* Bakûrê Helbestê
*Antolojiya Helbesta Bakûr
* Nivîskar: Arjen Arî
* Derhênana hunerî: Mesûd Xelef
* Berg: Rênas Hesen
* Çapxane:HAWR-DUHOK
* Tîraj: 750
* Jimara sipardinê: 1242

Ji Weşanên Êkîtiya Nivîserên Kurd - Duhok

109

www.duhokwriters.net

# PÊŞGOTİN: SEDEM

Weke min qet bawer nedikir ku rojek ji rojan ez ê mîna helbestkarekî bême naskirin, û ''toqa '' helbestkariya qewmekî bindest dê tekeve stûyê min; amadekirina Antolojiya Helbestan jî qet ne di bîr û bala min de bû.

Sala 1991ê yekem car dema ku min pê li Axa Azad kir,bi qasî ku 14 sal di ser re bihurîne,ew kêlî ji bîra min neçû:Derûnê min bi dîtina  Ala Rengîn re bi derbekê re tevizî.Min xwe wê kêliyê di nava hizr û hestine ku îro jî nikarim binav bikim û vebêjim de dît:Ya rast; sergêjekeke ku min bilerizîne û bi hemû weslên canê min re mêjiyê min jî bitevizîne li min peyda bibû.

Weke helbestkarekî digel ku min xwe tu carî mîna 'kesekî bindest' nedît; bi bikarnîna zimanê xwe re, li dû her helbestê ez azadtir dibûm,û weletê min î di rastiyê de qet qet ,ris bi rist xwe di helbestê vedirist û dibû xakeke yekrû û yekker.

Piştî ku salan da dû salan, bêyî kesek min vexwîne,bêyî ku kesek  min bike mêvan; her sê dîwanên min di destên min de, min berêvarêkê li deriyê Yekitiya Nivîskarên Kurd Tayê Duhokê da.

Ku ne şaş bim,bîra min min neşehetîne,wê berêvarê kesê ku derî wekir û got,'' fermo'' cîgirê S.Y.N.Kurd Tayê Duhokê kek Mihemed Evdilla bû.Berêz Evdilla,ne bi derûnekî bi şik;bi rûyekî geş û bi bişirîn pêşwaziya min kir,bi kesayetên li hola Yekitiyê  rûniştî dame naskirin û telefonek da Kek Hesen Slêvanî:

Kek Hesen ji Amedê mêvanekî me hatiye bi navê Arjen Arî.

Ji wê berêvarê de ez xwe wekî endemekî vê saziya xweşxebat,vê parêzgeha pîrozwer ,pira di navbera Bakûr û Başûr,Rojhelat û Rojava de qayim û tebût Y.N.K.tayê Duhokê dibînim.

Bi derengî be jî;naskirana hazonvanên mîna Hesen Slêvanî,Mihsin Qoçan,Arif Hîto,Hizirvan,Qadir Qaçax,Remezan Îsa…û bi dehan hêjatirîin navên bi rûmet; çîroknûs û berpirsê Kitêbxaneya Bedirxaniyan E.Mihemmed Tahir,rojnameger û çîroknûs İsmet M.Bedel;sekreterê Kovara Peyv'ê ku her peyva wî helbestek e- hêja Beşîr Mizûrî, rewan-vebêjer Kek Selam Balayî; mêjimişt û ramanwer Dr.Fazil Imer, berpirsê Rodyo Duhok Dengê Kurdistan Kamîran Berwarî,rexnegir Sebrî Slêvanî ku ta niha li hêviya rexneyên wî yên li ser "eroûtîka" me- her wehe rêveber ,nivîskar û xebatkarên Rojnameya Evro, Sernûserê Kovara Nûbûn hêja Xelî Duhokî… û serok û rêveber û endamên dezgehên edebî roşenbîrî….

Bi wext re, bi çûn û hatina bi ser hev de,di sohbet û axivtinên li ser rewşa wejê û ziman ên dû-dirêj de , min her ev digot:"Wêjeya Kurd, ne wêjeya li Başûr bi tenê ye!Wêjeya Neteweyî;ji Boraboz ta bigihe Hemedanî,Mella, Feqî,Xanî û Hejar û Hêmin û Nalbent… û ji ya li surginê bigire ta bigihe ya Kurdên Kurdîstana Sor,ji ya zaravê soranî bigire heta bigihe berhemên bi zaravayê zazakî; ji berhemên bi elfabeya erebî, kirîlî, û latînî, û elfabeyên dêrîn ên ku di serdeminan de ji hêla kurdan ve hatine bi kar anîn pêk

têt.

Îro jî di heman baweriyê de me, û ne ji mafê yek nivîskarî/ê ye deme ku qala helbestê bike, helbesta Bakûr an jî ya Başûr wek Helbesta Neteweyî derxe pêş,û tevgerên hozanî yên li qetên din pişt-çav bike. Belê; îro di zanko û zanîngehên Başûrê Kurdistan de Xanî, Mella, Feqî têne naskirin, têne xwedin; lê helbestkarên hemdem; cîlê pîştî Cegerxwîn ,nifşê piştî Gorînkariya Leşkerî li welêt mayî, yên mişext bûyî.?

Ez mirovekî tixub-nenas im; yanî bi gotineke eşkeretir, sînoran nas nakim. Lê mixabin di dema amadekirina vê xebatê de min 'êşa sînoran' nas kir:Eyan e;bi xakeke bi devê çar guran perçekirî de; helbest jî, çîrok jî, roman jî… weke alfabe û zaravayên heyî perçe perçe ne..

Li vir ,di vê xebatê de min jî sînor bikar anîn,û min hew helbestkarên Bakûrî; bi taybet yên ku xwerû bi kurdî nivîsandine ku me tevan di destpêkê de bi tirkî destpê kiriye(Rojen jî Mem jî, Berken û Sabah jî…) bi dû re ji ber serpêhatî û sedemên cur be cur em dageriyane mizgefta zimanê xwe- li welêt helbestek wan jî di kovarekê de der çû be;hûn ê di vê xebatê de li navê vî/wê rast bên. Tevgerên edebî-kurdî weke gellek caran tînime zimên; mîna serhidanan kurd in; derzxwer û şikestinxwer in:Numûneya herî balkêş ya vê şikestinxwiriyê di destpêka salên 1980 î de ye: Kovara Tîrêj…

Gorînkariya Leşkerî çend salek din jî dereng biketa, Tîrêj li Bakûr di qada wêje û ziman û çanda kurd de duyemîn tevgereke Hewarî dikarî rake pê!

Lê sed heyf ku derbeya leşkerî ya 12ê Îlona sala 80yî,weke li tevgera siyasî-ciwakî, pêşî li vê pêngava edebî roşenbîrî jî girt.

Bi gotinek din; helbestê jî, çîrokê jî bi 'koçê surguniyan' re ji Bakûr bar kir…

Di vê xebata ku ji du beşan pêk têt de hûn ê di beşa ewil ya di bin sernavê ''Bakûrê Helbetê' de li nirxandineke lêkolînî rast werin.Ev nîrxandin di qasî Helbesta Kurdî ya giştî,bi taybet 'biwarkirina' Helbesta Bakûr e.Di vê 'biwarkirinê' de min nikarîbû cih nede helbesta bi zaravê Zazakî. Wek temsîlkariyê ji vî zaravî min du helbestkar hilbijartin: Zulkuf Kîşanak û Çetîn Satici...

Ji ber ku armanc û mebesta amedekirina vê xebat û Antolojiyê naskirin/lêhaybûn/ rûberûbûna Helbest û Helbestkariya li Bakûr e;min weke helbestkarekî pîvanên hilbijêriyê, helbestiya helbestê li hêlekê danî; û min cih da helbestkarên ku rayeke/reheke helbestê di helbestkariya wan de heyî…Di nava van helbestkaran de çar nav hene,ku bi gir înad wek şêwaz helbesta klasîk ji xwe re hilbijartine:Bro Omerî, Mirz Ronî, Dilbêzarê Bêkes û Kalê Qurdîsî…

Wek peyva dawî; ez lêborînê dixwazim ji kesên berêz û hêja ên ku di destpêkê de dîwanên xwe bi zimanê tirkî çap kirine, bi dû re li surgunê, li mişextiyê li kurdî wegeriyane; dîwanên wan li bakûr an li biyanistanan çap û belav bûne.

Jixwe; di benda 'çarçovekirana' vê xebatê de min anîbû zimên, disa dubare bikim:

Sînorên vê xebatê Bakûr e,hozanvanê ku li Bakûr

jiyane; û di dema jiyîna xwe ya li Bakûr helbestên wî/wê weşiya bin e, û zimanê kurdî ye...
Bi hêviya ku rojek ji rojan ji ferhanga me Bakûr û Başûr,Rojhilat û Rojava…ev peyvên ku qet-qetbûyînê/perçebûnê/lihevparvekirinê bi bîra me dixin, ji kokê de rabin…

**06/07/2007Amed**
**Arjen Arî**

## PEYV

Di vê serdema pêşketinê de, ku bayê guherîn û veguherînê her roj li keviyek gerdûnê gorankariyeke ku ne di bîr û bala mirovî de ye pêk tîne, Peyva Kurdî ji Başûr ber bi Bakûr,ji Rojhelat ber bi Rojava de, helbet dê sînoran bibezîne!Jixwe ji roja roj, ji wextê nesalixdayî de “peyv ” hebû, û peyv digel hemû astengên heyî û hêçandî; sînoran stûr, zaraveyan ji hev dûr, elfabeyên cur be cur… dîsa jî gund bi gund, navçe bi navçe, herêm bi herêm geriya…
Ji vê, dagirkerên xak-dabeşker û qewm û çand-wendaker, bi qasî serhildêrî û berxwedêriya mirov, evçend ji dilêrî û serhildêriya “peyvê” bizdiyan.
Ma, tacîdarên ku xwe di şûna xwedawendan de didîtin, bo dahatûya text û tacê, dest neavêtibûn gewriya “peyvê”; û nexwestibûn li qesr û qonaxên xwe yî hîm-stûr û têrxeml, wê jî weke cêriyên xwe yî tolaz, nola qirdikên xwe yî şellaf kedî bikin?
Peyva xweş, peyva efsûnkar û bi sêhr ”mar ji kunê” dikêşa, û ya nexweş jî ji “xencerê tûjtir” şikestina “şûşeyê” dil bû! Na xwe, piştî banga her qasidî “peyva” ku bi şûr re bi ser serê yê ku “nehatibû ser rê “ de daket, em ê bi çi awayî rawe bikin?! Jixwe “ferman” jî peyvek bû, û peyva dawî, divîyabû biketa mista yê dest bi şûr! Ji vê, peyv ketibe destê kê ,bi mebesta mirovî re an lewitî , an jî bi ava “şûştina ji gunehkariyê” hate şûştûn!Û her mirov bi dû peyvekê de hate kuştin:
--“Were ser rê!”.

Xaçparêzan, weke ku li kevî û qorziyên gerdûna ku demekê di bîr û baweriya wan de rip î rast bû(!)ji keştiyên ji keştiya Nûh gewretir, bi rimên xwe yî dirêj î sermisasî ,di destekî wan de şûr,di destê din de ji şûr tûjtir peyva Xweda, pê li axa welatê Reşikên bextreş nekiribûn? Pirtûk jixwe ya wan bû, û ax wirde wirde bû milkê wan!
Li vir; li berpalên Cûdî, li keviyên Çola Ken'an "qelana qitika"bi êrîşên Xalidî* dest pê kir. Desthelata Samî li hêlekê bi devê şûr û hêza peyva pirtûka pîroz, Tirkên birayên "gurê boz" jî bi zext û rext û text û sûnda birayetiya du "gelên bira"; farisê pisê pisê pismam jî bi siyaseta "şûrê ecem" sînorên stûr û bilind, her ku çû, di navbera qewmekî, zimanekî û çandekê de asê kirin.
Lê, wan tiştek ji bîr kir: hêza peyvê!
Wan jî weke yên berî xwe nizanîbûn ku peyv eylo ye.Nizanîbûn ku eylo li kîjan asoyî bê bijene jî, soxî berê xwe dide lutkeyên çiyayên bilind û pêsîr agirdank!

## QASİDÊ PEYVÊ: BORABOZ* ANGO EVDALÊ DÊRÎN

***

*Rom û Hebeş û Fireng û Tatar*
*Herçî ku nekir bi dîn î îqrar*

*Neçarî gelek bi şûr fenabûn*
*Hetta ku hinek bi dîn teba bûn*
*Pûtxane bi agirê dişuştin*
*Atêşgede cimlekî ve kuştin*

***

*Da'wa xwe dikir bi dest û ezman*
*Destê wî bi şûr û dev bi Qur'an (1)*

***

Emr/ferman ku ji dev û bi destûra yê li Jor be, hingê li ber hêza peyvê keleha herî asê, hêza herî hêzdar diruxe, û qewm û gel weke ku bûn; "neçarî gelek bi şûr fena" dibin. Mûsa'yê ku li pêş çavên erd û ezman zikê Bahra Sor qelaşt, û qewmê xwe ji xezeba xeddar û sûpadar Fer'ûnê Qiptî rizgar kir, piştî çûna ber bi Çiyayê Tor ve,li vegerê dît ku peyrevên wî li dor Pûtekî Zêrîn çog dane erdê.Wê kêlîkê Pêyvên ku Mûsa xwestibû û Xweda li ser du ferşên reş bi xetatiyeke bêhempa nivîsîbû, Biraboz/Borebaz/Borêboz/Boraboz'ê me, peyva xwe bi feraseta "pey difire helbest dimîne" li ser berdeşekî bi ristine bîhn-evîn û mişt bêrî, diyarî yarê û dildarê peyva kurdî dike:

*Xwazdî ez tu bi hevra bîn*
*Werdî bihîrîn kûtara bîn*
*Bi hîv ra hîrîn xurînî*
*Bangik din bi hîv ra narînî (2)*

Li dû Birabozê li dû yarê dilbêhedar bi sêsed salekî; li pêşberî êrîşên hov û dirînde yê Artêşa Îslamî, ji qulzema hestên xwe yî neçar, peyvên hozan û xetkêşê navnediyar, ku qewmê wî ''neçarî gelek bi şûr fena''bûye, li ser qeteçermekî, li qorzî û qawêrên hêwî û tarî yê Şikefta Cêşanê hiştibû, ev bûn:
*Hormizgan riman atiran kujan*
*Weşan şardewe gewrey gewrekan*

*Zorkarî ereb kirdine xapûr*
*Ginaw paleyî heta Şarezûr*

*Şîn û kenîkan we dîl beşêna*
*Mêrd azar tilî we rûy hiwêna*

*Rewişt Zerdîştire manewe bê des*
*Bezêka nêka Hormiz we hêç kes.(3)*

Ev helbesta deh kiteyî û xweş serwa, enfaleke berî bi hezarûçarsed salî rûdayî, mîna ku îro qewimî be, ji wê rojê de dispêre kendalên bîra civakî ya li ber xitimandinê.
Bawer dikim, îro jî ev helbesta ku ji bûyereke rasteqîn; piştî êrîşên tund û dijwar yê fetihkariya îslamê ji deryaya hestên êşiyayî û çirûskên mêjîyekî bîrewer

peyv bi peyv pekiyaye, dilê xwendevan an jî guhdarekî weke roja ewil, ditevizîne.

Hûner ev e jixwe…
Bi qasî çoşên ji doh de mayî, her huner xasma helbest-dikare xemgîniyeke ku îro jî xwe li derûnê me rapêçe, me li dû xwe bixemîne û biponijîne, ragihîne me.

**RA Û RÎŞAL**

Her teyr bi refê xwe re difire.*

Babekî û Hemedanî hima hima hemtemen in.Yek di zarê Lorî de cengawer,yek di kurmancî de egîd .Herdu kurdên ku di serdemekê de dane ser rêya helbestê di detpêkê de,bi qevza ewil re ji hev dûr dikevin:

*Hûmayûn im serê çiyê weten e*
*Gerdûnê seyr dikim herder çemen e*
*Ne mal heye ne welat û ne saman*
*Ku ez bimrim per û baskêm kefen e(4)*

*Çunan feslî wehare, şewî yaran*
*Şewerey dîmî yare,şewî yaran*
*Borê ta badeyî weslit binoşim*
*Kî mergî întizare, şewî yaran(5)*

*Aşiq ew e ku herdem bi bela be*
*Mîna Eyûb bi kurman muptela be*
*Weke Hesen binoşe tasa jehrê*
*Mîna Huseyn şehîdê Kerbela be(6)*

Berevajî Babekî, Hamedanî bi çarînên ku îro jî bi ekl û çêj in helbestê li perde û 'xef'a tesavûfê dipêçe û beyt bi beyt dide ser rêya "Ehl î heq." Babekî jî hê wê demê wek Cegerxwîn zimanekî hesan û rewan û ewam hildibijêre bo ristên helbesta xwe. Weke ku ji gazela li jêr jî diyar e,Ebdulsamet Babekî teyrê helbesta xwe ber bi asoyên zimanekî evçend zelal, vegotineke evqas gelerî de firandiye, dengbêjên weke Evdal, helbestkarên mîna min îro jî bi dilbijokî dikevin temeşaya tahm û dengê helbesteke temen hezar sale.Ev helbesta peyvnarîn û mizgîn-xêr, weke ku Tara Caff li çengê bide û di ber re bi dengê xwe yê mişt hizn bigorîne, Babekî bi her malikê ji tama şi'îra kilasîk pitir, ekla stiranek gelerî pêşkeşî ruh û giyanê mirovî dike.Di beytên xezelê de bihara bûkîn evçend bi ciwanî, bi şayesek evçend law û spehî nîgar dike - ku her rist rengê kulîlkekê, her peyv liva xweristê ye- ji min re ji neqilkirinê pê ve tiştekî din nahêle:

*Dîla şa be,çi xweş hat dem bihar e*
*Reşemeh çû,terezan bûn diyare*

*Nîhal derbûn,xîşa hat av û dar e*
*Befir ker ker bû,bû keftî nizar e*

*Kulîlk û gul bi kem derçûn li kajan*
*Sivik hat,nêrgiza mest kofîxwar e. (7)*

Ya kofî-xwar û sermest bi min ne nêrgiza Babekî ye; bihara şiîra kurd e, bihara ku ji layê biyaniyan ve nas,

lê di çavên gelê ''guhdarkar'' û helbestkarê ''gunehkar'' de tûne, û qamir!

Di jixwebidûrketin an biyanetiya jixweyî de, bi baweriya gelekan, weke sedem pahra mezin deshelata serdest derkeve pêş jî, pişka "gayê pîr" di vê xeta xwar de têt jibîrkirin. Hizra xwebiçûkdîtinê di erdnîgara mirovê jêrdest de, hin bi hin dibe destpêka pêkhatina derûneke derizî û nasnameyeke tîş-tîşî!Ya ku karibe ji vê rûxîna derman-neyî re bibe senede; zarê bav û kalan, parastina çanda hevbeş, û hişmendî û feraseta Xanî ye.

**Her geya li ser koka xwe şîn têt.***

Bi pirsekê em rê li pirsa ra û rîşalên helbestê vekin:
Helbest/hozan/Şiîr ta çi radeyê di bin bandor/karteka pirtûkên pîroz de maye?
Weke ku têt zanîn, beriya daketin/nizilîna pirtûkên pîroz, helbest jî hebû, amûrên mûzîkê jî...Yek ji nîşaneyên angaşt/îddîaya min û gelek civanmêran ev e; piştî dahiştina ayetin Qur'anê, hîmê Ka'beyê ya ku heta wê dema "pêşangeha" helbestkarên ereb bû,li helbestê helbestkaran hate qedexekirin,û paşê jî ayeta Şûera nazil bû!
Dewlemendiya ziman û şiîra erebî ji ber ku ne mijara me ye, em ê li vir li ser ranewestin.Lê belê,divê em ji bîr nekin ku pirtuka pîroz a kurdan jî heye.Jixwe, peywira peyvê ya di rîtûalên ayînî de (cizb, surketin, limeja bi hev re…ayîna hevbeş ya di kêliyek demê de )kesek

neşê mandel/înkar bike. Li gorî Avestanasan, Gatayên (8)(got/gotin) Avestayê, kiteyî, bi serwa û xweş-aheng in.
Ev kitesazî/weznkarî ji heftan bigire heta hifdeh û nozdehan e.

Helbesta kilasîk î kurdî, na; lê rist û bendên dengbêjiyê ku her stiranek xwedî xwe û miqamekî yepirr dişibihin mezmûniya Avesta. Li Rojhelata Navîn pir eşkere ye ku ziman û çandan- bi taybetî helbesta gelerî û ya kilasîk û çîrok û çirçîrokên gelerî - ji hev xwarine û wexwarine. Lê, mesneviya pîroz *Mem û Zîn*, weke mesneviyên faris û ereban ji hêla teşeyî/formê de, ji layê bab û bendan ve, bi wezn û serwayê bişibihe mesneviyên hemdemên xwe jî, naveroka wê, mebesta nivisîna berhemê û ramana ragihîner, cihê ye ji mesneviya *Leyla û Mecnûn* û *Şahnameya Fîrdewsî*. Ev berhema herdem, dazanîna neteweyî, fermana Xanî ya damezrandina dewleta kurdî ye. Çendî dûrî bebeta me be jî, pirsa " Xanî ev mesnewî çima diyarî tacîdarekî, an şahînşahekî nekir?her di mêjiyê min de liviya, û min her ji xwe pirsî!
Soxî; gihiştim vê encamê, ku bersiva ez li dûwê me, di van malikên Xanî de ne:
***

*Ev pûl î eger çi bê buhane*
*Yekrû ne,û saf û bêbuha ne*

*Bê hîle û xurde,û temam in*
*Meqbûlê miemila ewam in*

*Kurmancî ye,sifr e, bêguman e*
*Zêr nîne bibên, ''sipîde mane"*

*Sifrê me yê sor e,aşîkar e*
*Zîv nîne bibên ku kêm eyar e*

*Neqdê me,bêje kêmbuha ye*
*Bê sikkeyê şahê şehrewa ye*
***
*Mehbûb e,bi kes ne nam-îzad e*
*Lew bexte-siyah û namûrad e! (9)*
***

Werin bibînin; bazara ku Xanî bi sedê salan berî niha jê bi gazinc e, hê jî ''kesat''e,
hê jî ''xerîkarê'' berhemên bi vî zimanî nîn in, hê jî 'mahbûbê ewam e'' û ''ne nam îzad e''.

Ev qewm, ev qewmê bi qasî temenê axa ku li ser dijî qedîm û kevn,di gel bikaranîna duwazdeh elfabeyan,mîna ku ji qonaxa guhdariyê derbasî ya xwîneriyê nebûbe, 'pulek' bi zimanê xwe nedaye.Di gel vê rewşa rasteqîn û gelemper,di gel ku ''zengelorka neteweyekî'' ji çar hêlan de tê givaştin da bê nefes bimîne;di her serdemekê de Hêmînek, Hejarek, Cegerxwînek radibe ser xwe, weke şivanê ku bi dengê bilûra xwe pezê xwe bikişîne ser avê, bi peyv û rist û newaya helbesta xwe zenga guhê qewmekî paqij dike; zimanê ''bexte siyah'' û ''na mûrad''û ''kêmbuha' 'buha' dike!

**ÇARENÛS:BEXTESİYAHÎ BÛYA!..**

*Men çi gûyem wesfi an alîcenab*
*Nîst pêxember welê dared kitab(10)*

*Ez çawakî bidim wesfê vî zatê mazin*
*Ne pêximber e, xwedî kîtab e bi min*

Ev rist yên Molla Camî ne, ku Mewlana kiriye hemhalê pêximberan.Zatê hêja, xwedan-Xanî û Xanînas H. Mem, ji Camî bi şûn de nemaye; li ser Xaniyê xêtîrika hişmendiya neteweyî û renckêşê zarê kurdî bi tirkî bin jî-gelek berhemên giyan-Xanî çap kiriye. Ji berhema H.Mem ya bi navê " Mamosteyê Sêyem:Xanî" em tê derdixin, ku Xanî, Peymana Qesr î Şîrîn ya ku di
navbera herdû dewletan,Osmanî û Sefewiyan de têt girêdan, wek "tarîbûna roja xwe bi nav dike. Xaniyê dûrbîn, vê peymanê, weke despêka pêvajoya qetqetbûnê xakekê, ji hev tîşkirina qewmekî dibîne, ku di wê kêliya bextreş de weha diqîre gûhê zemên:

*Tasek ji ava zelal nadim bi hewzê Kewserê*
*Levhatina Qesra Şîrîn jê nabînim tu meferê*
*Piştî roja me bû tarî mirin xweş e ji emberê(11)*

Belê.. doh jî îro jî navê mirina kurdan "qet qet bike, parî parî bixwe" ye.
Lê di dema desthelata Osmanî de digel qetkirinê; lawaz be jî, qe nebe ji Başûrê îroyîn şair û

roşenbîrên(weke Nalî, Siyahpûş, H.Qadirê Koyî… li Stenbola payîtextê Tacîdariya Âlî Osman, demeke dûrûdirêj dijîn. Siyahpûş piştî demekê bi şûn de wegere jî, Nalî bi “micewriya” saraya Siltên qima xwe tîne. Lê Koyî?..Ew jî weke H.Mem'ê me peyrevê hest û kesayet û gencîniya zanîna Mamosteyê Neteweyî Ehmedê Xanî ji cerg dildarê bilindhuneriya hunermendiya Xanî ye,ku li ser Mem û Zîna destnivîs ya bavê Celadet Bedirxan van ristan datîne:

Zemane resmi caranî nemawe
Çiraxî nazim û minşî kujawe
Le dewrî ême roman û cerîde
Eger çi meqsed e;zanînî baw e
Eman, qedrê bizane em kitêbe
Le dinya êstekî hemtay nemawe
Le eyamî heyatî şêxî Xanî
Le ser nisxey xet ew nûsirawe
Le layî erbabî xoy bo qedr û qiymet
Xezîney gewher e,û kîsey diraw e
Le mecmûhî diwel;Soran û Botan
Le sayey em kitêbe nasirawe
Le kurdan xeyrî Hacî û şêxî Xanî
Esasî nezmî kurdî danenawe(12)

Weke pirrê ronakbîrên îroyîn ên ku Stenbol weke parêzgeha xerîbiya xwe hilbijartine, Koyî jî li Stenbola pirr-qewm, pirr-ziman, û bi çandên cuda cuda mişt, li binemala Bedirxaniyan mamostetiyê dike!
Evî zatî bi malikek ji helbesta xwe herûher kiriye ku

Çirçîroka Orfeûsê sîtarjen û awazxweş ê Yewnanî bêt bîra min:

*Her minim esta warisî Îsa*
*Bêkur û bêmal,we bêjin mewa*
***
*Ewî şair nabe korocaxî*
*Le sayey şairekan babî kuranim(13)*

Li gorî çirçîroka Orfeûs û malikên Koyî; her helbestkar ji layekî ve bavê helbesta xwe ye, ji layê din ve neviyê hemû helbestkarê berî xwe …Koyî'ye ku bi dilbijokiyeke hunermendane dil dide Xanî; bêkur û bêmal û bêjin, sala 1897 ê li Stenbolê çavên xwe dide ser hev. Ew, niha li goristana bi navê Karacaahmed di xewa bêdawî de ye.

## NAVBİREKE DÛDİRÊJ:Jİ FEQÎ Û MELLA TA BİGİHE CEGERXWÎN

Ji hêlekê de bila Xaniyê nemir di mesneviya xwe de Feqî, Mela, Herîrî… heyy bike, Cizîrî berî Xanî'yê Kurdî-xan tîrên helbestê ji dîwana Mîrê Botan xwêjinkî bi ser Axa Îran de dibarîne; û dost û dujminan bi vê malikê dihesîne:

*Ger luluyê mensûrî ji nezmê tu bixwazî*
*Wer şiîrê Melê bîn,te bi Şîrazî çi hacet!(14)*

Li gel vê navtêdana Cizîrî, li Çarkendalên Çizîra Botan dengbêjên deng-dilbirêj bi dengê xwe,qîzên koçer li berpalên Cûdî bi payîzokên xwe;û derwêş bi qesîdeyên awaz-pîroz û rîtma erbaneyê, di nava xelkê de di “nêçîra peyvê” de ne. Av raweste jî, dengbêj nahedine..Ku kela wan germ dibe û her ku diçe li stiranê sor dibin… şevbûhêrkan miqam bi miqam bi destê “kilamê” dispêrin mista berbangê. Jiyana civakî ya ji hêlekê de mişt coş, li hêla din bi şîn û giryan e.Û jiyan di çengê zemanê bêeman de geh li dû zeman dixirrxire, geh sercotik, dibeze ber bi dawiya bêdawî de.Di xuleka herî aram a kêliya demê de, li ser vê axê; lawij, payîzok, dilok, berdilan…newestiyan; bêetlayî, "ji devê min û te"weke çemekî boş, herikîn nava mêlak û dilê civakê. Heta ku ji dengbêjan hat, her bûyer, her rûdan di tevna dengbêjiyêde hûnan, û bi awazeke gurr, pêl bi pêl sipartin palên bîra civakê û rêwitiya zemên.Elîşêr ne denbêjek be jî- weke Borebaz-, li gel Zarîfe xanima narîn û zarîf, ev şiîr bi hestên herî bi kerb, bi viyana herî bilind hûnand û koça peyvê ji Herêma Koçgirî ajot ber bi berpalên çiyayê Munzir ve: Weke ku bixwaze tola tivingê bi helbestê hilîne, peyva “dilo yeman” dêrand li ber bayê kurr, ber bi asoyên ezmanê axa serhildêr ve:

*Dilo yeman*
*Qoçgirî bo şer dest hilda*
*Deng li şerq û xerbê veda*
*Artêşek leşker hatibû*
*Têrê nekir ber xwe nade*

*Dilo yeman ,yeman ,yeman*
*Çiyan kırto berf û dûman,*
*Mera bişin Şahê Merdan*
*Ev dermane hemû derdan*

*Eşîretên Ovacixê*
*Welet girtin hemû cihê*
*Par ra hewar negihiştê*
*Hozatê destek nedayê*

*Dilo yeman ,yeman ,yeman*
*Çiyan kırto berfo dûman,*
*Mera bişin Şahê Merdan*
*Ev dermane hemû derdan*

*Artêşên kurdistana zer*
*Nehiştin barbar biçne ser*
*Ji bona welat dimirin*
*Naxwazin Moxolên şerker*

*Dilo yeman ,yeman ,yeman*
*Çiyan kırto berfo dûman,*
*Mera bişin Şahê Merdan*
*Ev dermane hemû derdan*

*Sondê dixwerin bi sêva*
*Bi Zulfîqarê Murteza*
*Par re têlan xef dişînin*
*Em tu car nabin eşqiya*

*Dilo yeman, yeman, yeman*
*Mera bişin şahi merdan*
*Ev dermane hemu derdan*
*Çiyan kırto berfo dûman (15)*

Dema ku çiya berf û dûman digir,şevên ta destê spedeyê dirêj, dest pê dikir.
Çîrokbêj li hemanekê bûn bo wegotina bê etlayî.
Dengbêj li mahnekê bûn ku destê xwe bidin ber gûh.
Û hazir û guhdar amade bûn ku bi heminî pala xwe bidin balgihên rûqedîfe.
Û jixwe Evdal qewirîbû ji odeya Surmelî Mehmet Paşa:

*Ez î Evdal im Evdalê Zeynikê bûm*
*Dengbêjê oda Sûmelî Mehmet Paşa bûn(43)*
*Îro bûme pêkenokê bûk û qîzên Heyder û Zîlaniyan…*
*Lê wayê… lê wayê… lê wayê…(16)*

Berî ku Evdal '' *lê waya xwe biqedîne*''ev erd rûbarî karesatike din dibe:
Mîrê ku xwe ji tacîdarê Osmanî bi esiltir dibîne,di demeke kurt de piştî xwîneke pirr
xwe û êl û eyalê xwe li Stenbolê dibîne.
Ruxandina Mîrektiyê Xweda zane bê bûye qîr û giryan di rist û bendên çend dengbêj û çend stiranan de…
Ji bilî stirana ''*Ez Xelef im,Xelef im*'' nûmûneyeke ku di dema lîstika zarokan de wek helbestê bêt gotin ev e:

*Qîqanê qîqanê*
*Pablûka mercanê*
*Mîrê kelê kanê?*
*Mîrê kelê kuştî*
*Ehya beg rûniştî*
*Ehya begê diz e*
*Qeytan kirne rêz e*

*Qeytanê mamê min*
*Her êk û bejna min*

*Bejna min çinar e*
*Wek dara henare*

*Henara romê ye*
*L'ber darê zorê ye*

*Bûka me d' hewşê de*
*Osmano di koşê de*

*Osmano,Osmano*
*Kulav rep î pano*
*Mîrê kelê kano?(17)*

*çend rêz serzenîş**

*her serhildan di berbangeke bêwext de rabû.*
*zeman har bû, adar bû, bihar bû*
*her ku çiyayek westiya, yekî din rabû*
*Tûjik şahid bû, lo! bi Bilgeş re Munzir*
*li vir Çil Kanî, çavî bi çavî ji xwînê zabû!*

**FERMANA HÊŞTİRÊ(45deve) RABÛ, ROVÎ BERÎ WÊ BAZ DABÛ***

Weke têt zanîn; piştî şikestina Serhildana Şêx Seîd - hindek kes bibêjin, ev navlêkirin karê dujmin e,ez ê dîsa bi wî navî vê serhildanê bi nav bikim - li tevî mişextiyên sala 1846ê Binemala Bedirxaniyan,bi qeflan roşenbîr û serwer û bîrewer û malbatên di tevgera azadîxwaz de bi liv, neçar man, xwe avêtin pişt ''xetê“; Binxeta bi navê îroyîn Başûrê Rojava.Weke leyistika zarokan, ''çavgirtînkê“, kê pêşî destê xwe li hillê da, ez nizanibim jî;
bi dû re damezrêner û endamên bizava Xoybûnê endamên Rêkxistina Cemiyeta Îstiklala Kurd -ku ev, jixwe li tevî serhildanê bibûn an mil dabûn serkeftina serhildana Şêx- tev... kurdên bi bextê Roma Reş nebawer, li Sûriya ku wê demê di bin dagerkeriya Frensaviyan de bû, civiyan: Binemala Bedirxaniyan, Ji Malbata Cemîl Paşazadeyan Qedrî û Ekrem, Seydayê Evînê û helbestkarê ku ''şiîr ji ezmanan daxist erdan“* Cegerxwîn, roşenbîr û torin Memdûh Selîm, hest-tenik û peyv-helîm Qedrî Can, axayê Hevêrkiyan Haco Axa, Heskê Têlî, Nuredîn Zaza, Dr.Nafiz, şair û pêşengê eşira Mirdês Osman Sebrî, û hwd...

## **HİNEKÎ AGİRÎ, HİNEKÎ HAWAR**

*kurteserencamek**

*Dem:payîz*
*Sal:1927*
*Cih: Behamdûn*
*hebûn bû Xoybûn*
*Xoybûn: ji nû ve rabûn*
*çiya hêvî bûn, tev bi hêvî…*

*û ew jî*
*bi Agirî re rabûn!*
*rabûn:*
*bi milê wan ve tivingên hêviyê*
*rabûn:*
*çiya bi axê şa, ew bi azadiyê*
*rabûn: bi hev re dilşa*
*û berê xwe dan welatê jiyê!*

*her ax jînistana jiyê*
*jiyîn ax e, mirin ax!*
*axxx axê  ax!*
*bextê Romê bextê gur bû*
*agirê Agirî agirekî gurr bû*
*vemire jî, dê vêkeve,*
*heke em mane sax!*

Hûn ê jî min mafdar bibînin; bi reva van mirovên hişmend, serwext û bîrewer re, qada roşenbîrî li Bakûr, hema hema vala ma.Birîna birîndarên Serhidana Şex hêj sar nebûyî, mişextiyên şikestina serhildanê, bi hêvî û hawareke nû, ketin nava lêgerînekê.Hêviya gurr û kerba daxwazên têkçûyî, kir ku di demeke kurt de bi pêşengî û serweriya Bedirxaniyan Xoybûnê ava bikin, xetîrka vemirî ya serhildana kurd, bi agirê evîna azadiyê, ji nû ve li çiyayên Bakûr vêxînin. Di serdema despêka şêr de, bi qasî ku ziman û huner pêdivî ye,- xasma bo bangeşî û ragihandina bîrdozî- tevgereke siyasî û çek-hilger, hem dikare pêşî li ziman û wejêyê veke(rêveker be) hem jî dikare rû ji vê rastiyê bade;ziman û huner û jiyandina
çandê, talokî pîştî şoreşê bike.

Jixwe wisa jî bû: Piştî şikestina serhildana Agrî, Bedirxanî ji serokatiya Xoybûnê vekişiyan ; berê xwe dan tevgera ziman û çand û hunerê...
Balkêş e; têkçûna serhildanekê, bi destê pêşengiya serhildanê, dibe destpêka serhidaneke din:Serhildana huner û wêjeyê!Weke kelepûrekê, ev tore/adet; piştî şikestina tevgerên siyasî-çekdarî, an jî têkçûna serhildanan, xwedîderketina li ziman û çand û wêjeyê, ji 1932wê dest pê dike,xwe dispêre îro. Mebesta min bi bikaranîna vê hevokê, qet ne biçûkkirina tevgerên piştî tekçûnan e; hew dên û balkêşandina bi ser vê tesbît/destnîşankirinê de ye.Mînak, pîştî bîst salên bi şer mişt, têra xwe bi xwîn û bahrûd, têra xwe bi êş û hêsir, hewldanên pêkanîna "şoreseke zimanî û çandî û wejeyî“ îro di rojeva Bakûriyên Serxwebûnxwêz (!)de ye.

## HAWAR:SİHÛHEFT BANGEWAZÎ!

Kaniya hêviyê namiçiqe; mîna rûbarekî boş, ew her diherike.Weke nan û avê ye ew; bo mirovî weke ax û tavê...Dilîna herî mirov-xwedîker e hêvî. Heta ku xwîn di dil û rayê mirov de bigere, hêviyek hêviyekê xwedî dike.Ku hêviyek te nemabe, ji kerema xwe, hima ji dev jiyanê bigere ;here bimre !

Ya ku Mîr jî çik, li pêya dihişt hêviyek bû: rojek ji rojan, wegerina li milkê bav û kalan, li Cizîra Botan, li Birca Belek..!

Li gorî rîwayetekê, Seîdê Kurdî- bi navê Seîdê Nûrsî jî têt naskirin- pîştî şikestina Serhildana Şêx Seîd,sundeke asê dixwe; qesem dide ku bi pênûs, tola Şêx ji dujmin wergire!Gelek caran rîwayet li rastiyan, rastî li rîwayetan têne pêçan. Li gorî hinekan dibistan; li gorî min piştî hilweşîna kelehên ziman, û bîreweriya neteweyî û şiîra kilasîk Medreseêyên Kurdîstanê, di Dîroka Wêjeya Kurdî de Tevgera Edebî-hunerî ya herî mezin, Hawar qîrîna li dû şikestina Serhildana Agirî ye.Weke ku Osman Sebrî di nivîseke xwe de nivîsî ye: "Çiyao! Te çend birayên canecan hebûn....", hemû roşenbîrên ku hêviya xwe bi serhildanê ve girêdabûn, piştî têkçûnê, ziman û wejê kirin berik, û ajotin devê tivengên bêxwedî mayî.Her şerker, di vî şerê nû de li dû serleşker Kamîran Bedirxan "rextek“ wêjeyî, mişt berikên kurdî, çepûrast li xwe pêçan û daketin qada tolhildanê! Li vê meydanê bi qasî ku her şerker xwedî xwe û "çekekê“ye, Cegerxwîn tevan; nas nenas; Qedrî Can, Osman Sebrî, ...di toza helbesta xwe de dihêle.Wê demê, bi qasî mirîdê şêxên terîqetan mirîdên helbesta

Cegerxwîn peyda dibin. Ew, hêj helbest çapnebûyî, helbestê jiber  dikin û radighînin gund û navçe û bajaran!Cegerxwîn, -di gel ku kurmê neteweperweriyê di xwîna her helbest û helbestkarekî de tevdigere- têgeha Şairê Neteweyî, ev xoş-mirov heq dike. Ji ber du sedeman:yek, piştî mirina wî,ne li Bakûr, ne Başûrê Rojava/Binxetê kesekî nekarî valahiya wi dagire,ya duduyan; berhemdariya wî û tevgara wî ya li dû nûjenkirina helbestê! Bi peyva wî,wî çendî helbest ''ji ezmana daxistibe erdan",evçend bi helbestên weke ''Kîme Ez'' , ''Ey Heval Robson'' berê helbesta xwe bi xwe daye asoyên peydakirinên nû.Nûjenkirina helbesta klasîk ango di helbesta klasîk de despêkirin û peydakirinên nû, bi Seydayê Evînê Cegerxwîn,Reşîtê Kurd,Qedrî Can re dikeve rojeva helbesta Bakûr û Binxetê.Ji vê hevokê, kesek ma'neya xwediyê ''Gula Sor'' Qedrî Can û xawên-evîn Osman Sebrî ne helbestkarine hêja ne, ne xwedî kartekê ne di helbestê de,dernexê:Cihê ku navê Reşîtê Kurd lê bêt gotin, bo min li wir helbesta nûjen dest pê dike :

***BASÊN BÊRÛDÊ***

*Zivirîn çerx*
*Bas liviya*
*Dolab geriya*
*Gêr bû bas*
*Bas firiya…*

*Wek colek berx*
*Rêwî*
*Bi ser hev de bûne kerx…*
*Hin rûniştin, hin ji piya*
*Bi çeng ve daliqîn*
*Qor qor sik sikîn*
*Pev zeliqîn…*

*Nere bas!*
*Here bas!*
*Şofêr*
*Zirezop*
*Çav li serî bûne tas!*
***
*Bi giştî deh peya*
*Rûniştî…*
*Ên mayî*
*Tev ji piya*
*Bi çenga ve daliqîn*
*Qorqor sik sîkin*
*Pev zeliqin…*
*Nere bas!*
*Here bas*
*Şofêr*
*Çav lê bûne tas …*
*Hop!*
*Berdestî mîna top*

*Here bas !*
*Gêr bû bas*
*Kilek li pêş*
*Du kil li paş….*
*Hejiyan bîst û neh laş…(18)*

Weke ku ji helbesta wî ya li jor jî dixuye, Reşît herçend helbestkariyeke nûjen peyda kiribe jî, ev nûjentî, nûjentiyeke di bin karteka Futurîstên Rûsî de ye, şêwaz raste rast hilgirtiye/veguhez- tiye kurdî.Lê,divê bibêjim ku ev helbest di zimanê xwe de,bi qasî helbesta N.Hîkmet ya bi navê " Tirîk Tiraq" levhatî, xweş-aheng e; digel ku di hinek ristan de risteşêwaziya kilasik hewandiye.

**MEDRESE :XİŞT Û TİZBÎ AN ŞEBÇİRAXÎ ?**

Ji 'Şebçirax' Mellayê Cizîrî, ji 'avrawestîner' Feqiyê miriyê li ber piyê 'Dilberê',ji Xaniyê ku Mem û Zînê kirye 'behane', ta bigihe S.Eliyê Findikî yê ku gotiye:
*Ez ne şêx im ku we' zê kim*
*Ne maldar im ku xêrê kim*
*Du sê beyta ez ê çê kim*
*Ji xeyrî vê ji min nayê(19)*
Medreseyên Kurdistanê, li gel rist û malik û çarînên têrgilî û gazinc :

*Bes e paçik ji guh derxe çi hewar û çi qêrîn e*
*Xwe rapêçe ji bo cengê bi zor heqê xwe bistîne*

*Dizî û cirm û bêş û zor,bes e millet li te şerm e*
*Dema teng û firoka ye çi xişt û def û tizbî ne!*
***
*Cegerxwîn tim dikî qêrîn,sîtem dimrî bi hukmê dem*
*Ji min bawer ke ey millet,nebê dîne ne bê dîne !(20)*
***
*Şêxê min destên te îdî maç nakim ez bes e*
*Kavil û wêran te hiştin ev sera û madrese(21)*
***
*Kitêb dixwênî xet bi xet ,''wecahûdû'' naxwênî qet*
*Ji destên xwe berdan qaz û bet,tê çi bifirênî mela!(22)*

yên Cegerxwîn ; parêzgehên ziman in,qulzema helbesta kilasîk in,xwendingehên bilind ên zanyariyê ne.

Ev rewş,bi teybet li Bakûr, heta serdema daxuyandina Komarê wilo ye.Pîşti îlana Komara Ciwan pêşbîn û bîrdoza bingehîn ên damezrandina Komarê ; yek al,yek ziman, yek netew; Medreseyên ku heta wê demê navenda 'Nûbihara Biçûkan'û senedeya bîr û baweriya 'sahbrewacan' bûn, weke gellek kelehên din ketin mista desthelata Komarê.

Heta dama nêz meleyên ku bi ola xwe,bi şêxê xwe,bi gel û gundiyê xwe ve girêdayî û motacî zikeya dewlemend û feqîrên kurd bûn,bi fermanberiya li ber devê dergehê dewletê re ji bilî kesine xwedî bext û wijdan-ji vê rastiyê rû badan,xwe spartin destê Dewlata ''emîn' û 'ewle'!

Ew xwespartin bivê nevê bû sedemê dûrketina ji gel,pê re bihêzbûna teriqetan,û miçiqandina serkaniyên helbesta klasîk.Wek nûnerê vî nivşî ku çend nav

pêwîst bin:Mele Namî,Seydayê Tîrêj,Gurdilî,Seydayê Keleş...dikarin bêne jimartin.

*Pêşî têrî,bi dû re şêrî**

Piştî van kurte-agahiyên derbarê rewşa dîrokî û tevgera civakî û serhildanên şikestinxwêr, êdî em dikarin hêdî hêdî dagerin ser mijara bingehîn, mijara ku weke "bivvikê“ kesêkî nexwest bihingiviyê, an jî nekarîn bihingivinê:

**BAKÛRÊ HELBESTÊ/HELBESTA BAKÛR**

Bakûr; qetebirayê gewre yê axa dabeşkirî, bi taybet piştî salên şêştî, piştî biryara ji layî rêkxistinî ve veqetandina ji çepên tirkan a welatparêzên çepgir ên kurd, ji alî ziman û çand û wêjeyê, da ser rêya çûn û nehatê: Biratiya gelan, çarenûsa gelên bindest, hevkarî bi pergala sosyalîst a dinyayê re, û...

Weke li tevahiya cîhanê, bîrdoza çepgir, hest û hişyariya neteweyî di mêjî û dilê kurdên Bakûr de jî, her ku çû, avêt xewlecihên bîra jibîrkirinê. Zimanê propoganda/bangeşiyê bi derbekê re bû tirkî.Li ser hîmên navçe û bajaran diruşm bûn tirkî. Gotûbêj, nîqaş, sohbetên li kolan û çayxaneyan bûn tirkî.Weke ku xoşewîst Selîm Berekat di hevpeyvînekê de gotî, " min xwest zalim jî ji min tê bigihin, min lewma bi erebî nivîsî“, çepên kurd yên beriya salên 80yî jî heye ku gotibin, bila tirk jî bizanin ka em doza çi dikin(!) dest avêtin zimanê tirkî!Avêtin ew avêtin; li vê karesatê binerin; desthelata bişavtker, ji duhî de razî bû, û bi dizî, di ber xwe de li 'cam-camkan' dida û li çepkan

dixist ; lê deng nediçû guhgiranên kurdên çepgir.Di havîna sala 71-72wê de şi'hr-stiranên weke 'Her bijî bavê İdrîs / Bikuj wan xayinên pîs',ku heta daviya sala 76ê li tevrika pembû,di ber tevrikê re dihatin gotin,û tevrikvanî hey dikirin,di havîna 77-78ê de bûn 'Roja pala erzan e,Kufletê mal giran e'û hişmendiya çepgir a ku karker û gundiyên xîzan weke serkêşê şoreşê bi nav kir,hemû warên jiyana civakî xist bin bîr û baweriya xwe. Jixwe di heman salê de, bi hêviya şoreşa beyendî(!) Bakûriyan hêdî hêdî rûyê xwe ji Şîmal badan, berê xwe dan qiblegehên berovajî!

Dîsa jî, di nava vê izomatê de, helbesta ku bi methiye û pesinkariya Leşkerê Oktobrê li qadan deng vedida,li Bakûr bi rist û malik û çarînên Seydayê Mele İmadeddîn, bi dengê Melle Ca'fer ji teyp/miseceleyan, û xweşxwendina Şêx Mîzbeh bi şêwazeke qilasîk î nas, mîna ku bixwaze rûbadayiyên ji tevgera Barzan bi bangeke din bihesîne, li kolanên navçe û bajaran bela dibû! Weke:

***Methiye Bo Barzanî***

*Qehremanê esra bîstan Mistefa Barzanî tu*
*Her bijî ey pêşewê kurd û Kurdistan î tu*

*Miletê kurd te xelas kir ew ji bindestê neyar*
*Rih û canên bi qurban bin melce û armanc î tu*

*Dahw û doza serxwebûnê te bi alem ragihand*
*Geh li Parîs geh li Niyork dengê meb' ûsan î tu*

*Hêvîdar in em ji Yezdan ku Te miwefeq bike*
*Şoreşa te biserkevtin da bibin mêvanî tu*

*Her ji Sêwas ta Kirmanşah li bin ala te bin*
*Amed û Farqîn û Batman merkez û seyranê tu*

*Hem li pêşber te merasim xwendevan tev sef bi sef*
*Leşkerê awazê bando ringe ring topanî tu*

*Qîz û xort û bûkê kurdan tev bi hev re dîlan bikin*
*Daîm bi yek dev bibêjin her bijî Barzanî tu(23)*

Li gel methiyeya li jorîn,ev helbesta li jêr rewşa civakî û ramanî ya wê demê,dema ku bizavên çepgir pirr bûn, û ji dêvla ku li dor armancên sereke yekitiyekê pêk bînin bi hev ketin;wê rewşê eşkeretir û zelaltir li ber çavan radixe:

## ***Dûvê tajî û bageran***

***

*Ev Mahmût û ev Etman çendî ne xwendevanbûn*
*Dema ku çûne Sûrî li wê derê şiyar bûn*
*Meger di wê eşîrê hebûn çend camêrên qenc*
*Bi vê dubendiya han kişandibûn êş û renç*
*Wan ciwamêran bo silhê li herdu ciya gazî kir*
*Nexweşiya eşîrê wan pê agadarî kir*
*Go: duvê tajî û bageran ne der de bo eşîrê*
*Ev tiştekî netişt e bê delîl û ne li rê*
*Ev tev lawê kurd in ji yek dê û bava ne*
*Lazim hemi bibin yek li hember dujminane*

*Bi van peyvên xweş û rind gelekî li hev hatin*
*Dîsa li berberoşik li hevdu tev civat in*
*Kalek rabû ji nav wan,goya aqilmendê wan*
*Kinc û mêjî zingarî evî kali gote wan*
*Go: em îro bira ne,me hilaniye neyarî*
*Wê rojê dûvê tajî li bageran ket, min dî!*
*Yekî bersiva wî da,got: wellehî ne wisa ne*
*Cardin ketin nava hev bû axirdewran e!*
*Doza firaksiyonên kurd eyn wekî ya wan e*
*Dûvê) tajî û bageran ew derdekî gran e*
*Ev çin û Sovyet-Rûsya bûn Mahmût û bûn Etman*
*Li ser xort hatin kuştin ew xortê qimetgiran e*
*Sosyalîsta Rus û Çîn, ew ne derd e ji bo me*
*Kî dostê kurdîstan be cihê wî li ser serê me*
*Madamkî hûn sosyalîst in çiye  ev neyarî*
*Çi DDQ çi Kawa, çi Apocî Rizgarî*
*Li cebheke yekitî hûn tevde cî bistînin*
*Destên xwe bidin  hev kurdîstanê derînin*
*Sosyalîstî pir xweş e,lê ku meriv nebe dûv*
*Doza vî xelkê bindest nabe bi hîle û çûv(24)*

Beriya Seydayê Mela İmadeddîn, siyasetmedar-roşenbîr  Serokê PDK-Tirkiye Şehîd Faik Bûcak, di ber serokatiya bizavê re xwe radikişîne helbestê.Helbestên xoşewîst Bûcaq, weke helbest gava ku meriv li wan meyzêne; şêwaz qilasîk e,tema welatperweri/gilîyê ji bindestiyê/bibîrxistina kurdbûyînê re, pesn be jî weke rist, ristesazî, şêwe û zimanê helbestî ne di radeya şi'hra Melle İmadedîn de ye:

***Berzanî***

*Xeber hatê li Iraq*
*Hindik mayê rojhilat*
*Dabejin top û tifêng*
*Berzanî bo me bû piling*

*Serêk milletê meyê*
*Lewra rumeta meyê*

*Werê kurdo bilizê*
*Felata me pir nêze*
*Alam daye Berzanî*
*Xoybuna me dixwazê*

*Serêk milletê meyê*
*Lewra rumeta meyê*

*Werê kurdo sond buxhê)*
*Alê l[1] burca darxê*
*Çêk û posata pexê*
*Her çi dijminê lêhe*

*Serêk milletê meyê*
*Lewra rumeta meyê.(25)*

Di vê mewayê de;navekî bi rûmet heye,ku em nikarin li vir bi bîr neynin:Kemal Badillî.Mixabin min di derbarê helbest û helbestkariya berrêz Badillî de çi agahî bidest nexist; ji bilî helbesta wî ya li jêr, ku Koma Mizgîn kiriya stiran:

***Şivano***

*Şivano coş dibî tu li dest û diyaran*
*Nabînî tu ruyê ne derd û xedaran*
*Şa dibî tu herdem bi berx û bi karan*
*Xwezil ji berxên te jî yek ezbama*
*Heyla lawo şivano*
*Ez heyrana şivano*
*Heyla lawo şivano*
*Ez qurbana şivano*
*Pif dikî bilûrî tu li şevên tarî*
*Top dibin pezên te tev li te dikin guhdarî*
*Çi dibê tu ji wanra tu bi kîjan zarî*
*Xwezla ji guhdarên te jî yek ezbama(26)*

Di gel vêya ,ne bi kurdîyeke tekûz be jî - Kek Ramazan Alan mafdar e bibêje ev yek ji helbestê wir ve tir temsiliyeta ziman e- helbestên Edo Dêran di mitîngên pêşverûyan de di mikrofonêde bi per û bask dibûn!Mîna vê helbesta li jêr:

***REV***
*1*
*Ser meda girtin*
*Berbangekî kûr*
*Em du dira bûn*
*Eme destvala*
*Isdêrk hulduşiyan*
*Dîkê sibehê hê xew da bû*

*Em du bira bûn*
*Ketibûn pey belengaziya xwe*
*Derketibûn serê çiya*

*Siha me bû me ra hewal*
*Yek ji çiyayê porspî*
*Me nizanî bû*
*Çiya ne bêbext bûn*
*Mîna cendirma*

*11*
*Helîya*
*Berfa zivistana reşedirêj*
*Derbahare nuha*
*Gundî gi derketin cot*
*Çar god cehêd me man*
*ÇELEDA*

*Em du bira ne*
*Dudu jî tiving*
*Ketine serê van çiya*
*Me zanîbû(93 li jor dibêje me nizanibu)*
*Çiya ne bêbextin*
*Mîna cendirma*

*111*
*Baranê destpê kiriye*
*ÎŞEV*

*Mîna zalimekî heyanî sibê*
*Bêdew û darbe*

*Rûbarê dunê da*
*Kevir û kuç deng dane hev*
*Ser meda tê çargav*
*ÎŞEV*
****
*Em du birane*

*Du ji tivingê MARTENÎ*
*Ketin serê van ÇİYA*
*Me zanibû*
*Çiya ne bêbexbûn(94 bêbext dibêjê li jor)*
*Mîna cendirma   (27)*

Tesbîta B.Bereh ya di derbarê şêweya helbesta Dêran de:"... Di helbestê de rîtm û awazeke melodîk heye.......her çiqas ji alî teşeya xwe ve bişibin ên A.Arîf jî, ev, bandoreke normal e..." .(28)bi ser xwe ye. Lê belê; bi qasî şêwazê, ji peyv û ristên Dêran em nêzîktêdayîneke temayî û awazî jî dibênin, ku ev yek, pê re pê re helbesta A.Arîf bi bîra me dixîne.Ev jî ji bo Dêran û helbesta Dêran ne kêmasiyek e; wê serdemê, çi kurd çi tirk, helbestkarê ku pişt û pênûsa wî di bin giraniya helbesta Ahmed Arîf de netewiyabe, nîne.Li vir, bi vê delîveyê, dixwazim bêjîm: Ahmed Arîf bi yek dîwana xwe, di helbesta tirkî de çendî teqiyanek qewimandibe jî, dengê helbesta Arîf dengekî dengexemgîn î kurdî ye, mîna ji dawiya şikeftên çiyayên Dêrsimê, weke ji binê bîrên zik-xişn û devkiçik yên kuffarî ,nola ji binepalên newala geliyê Zîlan derê, li xemgîniyeke serhildêr rapêçayî, nêr û mêrxas e. Jixwe, nîvê nîvyeka ku kurd li helbesta Arîf xwedî

derketin, Arîf ti carî xwe weke kurdekî binav nekir; her got," ez kur-eşîrek im".

Weke bi ser ve zêdekirinekê; heke hat û helbestên Dêran çap bûn,û di nava helbestên wî de helbestên bi vê cureyê/şêwazê :
'Ji bîr bik stiranên reşbîniyê, ji bîr bik
Kilama Saliho bêje,
Da bibînin çi dayikên gernas hene
Û çi mêrxas anîne dinê!'(29)
pêş de biribe, wê gavê ez ê bibêjim ne Dêran, Arîf di bin karteka şêwevegotina gelerî ya dengbêjiya kurd de ye,û di heman demê de di bin ya Dêran de...
Li vir ji ber ku peyv ji peyvê zêde bû û me bêhemd qala dengbêjiyê kir,pêdivî ye û ji mafê min e ku di vê biwarê de çend tiştan destnîşan bikim.

**HOMEROSEVDAL**

Kîjan şa'irê tirk e, nayê bira min,weha dibêje :
''*Her ku li stiraneke gelerî guhdar dikim*
*Şerm dikim ji ber helbesta xwe*''

Li gorî hinekan diroka weşarî dengbêjî,li gorî min tevna zimên,bîra civakî û tevgera 'hozanvaniya kurd''(li vir peyva hozanvan ne di wateya şair de,di maneya kesê ku zane li hev bîne,bihoyîne û bistirê de bi kar tînim) dengbêjî yek ji hîmên sereke yê bingeha helbesta kurdî ye.Ne helbest tenê; dengbêjiyê bi helbesta kurdî re, romana kurdî jî, çîrok jî di bin bandora xwe de hiştiye,ku Romannûsên mîna Memet Uzun, û Suleyman Demir ajotine ber bi vegotineke dengbêjî de:

*Wî çaxî Lopûhov hat bîra wî.Evîna wî dixwend.Gihabû ku yekê ji herdu pirtûkan bixwîne.*
*'' Ma Lopûhov ji bo Vera  çi nekiriye''ji xwe re got û di derheqa xwe û Gulê de giha biryarekê.*
*''Ez ê bi destê Meyremê na, na, ê Gulê- bigirim û birevînim*
*ez ê wê li hemû deveran bi xwe re bigerînim*
*di nava çi dawet û dîlana ku heye de*
*wek demançeyek pûlisî ji ber xwe bikişînim*
*li ber pozê kurên camêran*
*xwe pê re li erdê xînim*
*û bihejînim'' (30)*

Bo bîrxistinê ;şêweyek ji şêweyên dengbêjiya kurdî jî li gel herîkîna stiranê,di nava stiranê de vegotina çîrokî ye.Weke mînak, ku dengbêj şerekî bihoyîne, li gel danberheva lehengê şer, dengbêj radibe mîna bixwaze dikeke şanoyî pêk bîne û pê re guhdaran/temaşevana li tevî bûyerê bike, ji nivşkê de dest bi çîrokê dike.
Weke malwêrantî û bêqirdiya di gellek waran de,gencîniya dengbêjiya kurd jî nehatiye parastin, zû neketiye bin qeyd û merbedên nivîsê. Bi gotineke din ; berhemên dengbejiya kurdî bi rêveçûna zemên re ji resentiya xwe ya roja ewil-li gor min- bi dûr ketine. Îro di vê qadê de resentirîn berhem yên Evdal dixuyin, lê belê yên din ji hêla ziman û ristesazî, rewaniya peyv û serwakarî û awaz û li hev anînê ve lawaz in, ne di çêj û ekla berê de dixweyin.Yek ji nişaneyên vê angaştê rewşa berhevkariya çîrokên gelerî ye, ku îro çîrok û çîvanokên ku ji nava gel têne berhevkirin ji devê çîrokbêj "ne pirr kal" per î perîşan dertên ji hêla ziman û vebêjerî û herikbariyê de.

Ku weke Îlyada'ya Homeros, hunera dengbêjiya kurdî û destanên gelerî hezar, du hezar sal berî niha Rapsodên Kurd bigotina û ji hêla xetkêşan ve bihata nivîsandin, bi taybetî helbest, bi gelemperî wejêya kurd dê di qonaxeke din de bûya !Di gel vê rewşê, helbestkarê hemdem yê nezenasê wêjeya devkî, weke şairê tirk gotî, bi baldarî û dilbijokî temê xwe dibijîne stiran û lavij û heyran û payîzokan...Ev heyranî, ango kartek bi taybet di helbesta Receb Dildar û Omer Dilsoz de serî li helbestê hildide:

Nûjdarê
Lê Nûjdarê
Mijê avêtibû ser pesera
Nizar bû
Sar bû
Dilrizî tiliyên li ser hevsaran
Mala bar kiri bû
Koç bi rê ketibû,Nûjdarê

Mijdar bû
Mijê serê çiyan nixaftibû
Berfê darêtibû ser zinaran
Xwîn diqerisî li rehên mirov
Lê Nûjdarê
Jehr beravêtibû salê
Ji malzaroka axa ya demsala çarmehî(31)

Ez ê li vir vê sohbetê bibirim, bihêlim ji nivîseke bi taybet li ser ''Dengbejî :di helbesta Ahmed Arîf û helbesta helbestkarên kurd de giyanê kurd û ristên wergerandî", û ez ê dagerim ser mijarê:

Heke em şiîra jêderk-Medrese li hêlekê bihêlin, raperina helbestê li Bakûr ji bilî helbestên ku di mitîngan de dihatin xwendin- bi pirtûk/diwanekê ya bi navê ''Li bendava Spêdê" dest pê dike. Sal 1979 e, helbestkar Rojen Barnas e. Barnas di dîwana xwe de li gel helbesta kilasîk -weke çarînan û bendên heft kiteyî- helbesta bi şêweyeke ku heta wê demê ji hêla tu helbestkarî ve nehatibû ceribandin helbestkar nînbûn, ku biceribînin- ava kiribû.
Ev avahî, avahiyeke nû bû. Bi zimanekî zelal, peyvên bijarte, qorên li hev, karkeriyeke karîger, dengekî lîrîk... û bi kartek...Çarîneke hemdemê min Barnas hêj jî di binê bîra min de veşartî ye. Ha, bo we:

***Çarîn***
*Li qesaxa evîna te*
*Dil masîyek pirpitandî*
*Bê derya evînê kê dit,*
*Jîndariyê kê hêçandî! (32)*

Di vê çarînê de peyvên ku qorê helbestê diristînin 'qesax','masî','derya','jîn' evçend bi hev ve bestî, evçend bi hev re hemhal in, çêja dezgehê helbestkariya nû aresteyî meriv dike :ji çarînê bîhna medreseyê nayê ,ji tesawufê dûr e, xwe radikêşe evînjenîniyeke berfereh. Li Binxetê di ber bikaranîna qalibên helbesta kilasîk re Seydayê Evînê Cegerxwîn bi qalibên heyî re

bila têkeve nava rûxandin û terkkirina rêbazên heyî, li Bakûr, Barnas derdavên peyvê dixe devê peyvê, û dikeve pey bidestxistina nasnameya helbestê :

***Milkê Evînê***

*Min milkek heye li wê deverê*
*Sekaniya evîn,û geşasoya xweziyan*
*Karîna jiyana min*
*Bi rik jê dizê.*

*Milkekî diherike û tê*
*Dastan e,ji xewnan vehonandî*
*Milkekî difûre,belê*
*Gewlaz e,ji axî û keserê*
*Ku hê ji „Qalûbela“*
*Tarîx e li enî û*
*Nûsîn e,libextê me.*

*Milkekî ji navserên li Munzir û Agirî*
*Serejêrî Xaniqînê dibe*
*Gava roj dibişire li Mahabadê*
*Qeresî digermijin ji kêfa*
*Li lodik û mesîlên li Efrînê*
*Li wan berwarên çiyayên Kurda.*

*Min milkekî heye ku lê*
*Her deq-qe*
*Perçeyek min*
*Tête kuştin*
*Di ber da*
*Û jê*
*Her deq-qe perçeyek min*
*Ji nû ve dizê. (33)*

Belê...Barnas, bi qasî ku ji helbesta kilasîk î kurdî haydar e, evçend nêzenasê helbesta tirk, bi taybet helbesta Nazim Hîkmet û ya Ahmed Arîf e! Ev nêzenasî kilîta avahiya helbesta Barnas e, ku:

*Pêrgîn*

*Rabin pêrgînê xwenasîn*
*Xwezanîn rabin li piya bipên*
*Mizgîna seredana vejînê ye*
*Bibihên*
*Bihîstin helbet*
*Bihîstin xwenasîn û xwezanîn*
*Li piya stran bi dîlok,bi bêlûte*
*Û stran strane*
*Ji devê min û te*

*Dîcle Firat jiyan e*
*Jiyan kur e li berê*
*Ji destpêka bê destpêk*
*Hetanî serbiserê*
*Delala ber dila ye*
*Dilê b' tijî keserê*

*Ma gelo emê çawa*
*Canê xwe nedin l' serê? (34)*

...weke sentezekê(jihevderxistin û biserhevvekirinekê) ji tengî Xanî dide ser rêya helbestê, û berê xwe bi bergeh û asoyine nû: Bircên Diyarbekirê dibîne, ''navê xwe dikole" li wir; digihe Mahabad, li kolanek nêzî Meydana Çarçira dibe ''mindalekî çar salî" û... heta niha ji ''Milkê Evînê" dûr, rist bi rist ji peyvên xwe guldesteyên evîn û kînê diyarî Başûrê Helbestê dike.

**KOVARA XWERÛ KURDÎ:ROJA BİSTÛYEK TÎRÊJ**

Weke ya birrek mirovên peyrevên tirkî,şerma min jî be, rastiyek e:

Min jî bi tirkî dest bi helbestê kir!

Û mikur têm; berî Cegerxwîn, berî Xanî, Berî Mella serê min di ,'neqeba helbestê ,'de li serê Ahmed Arîf ket, destên min dirêjî çêja helbesta Nazim bû.'Xwîna Almerîa' dilê min ev çend bijand Nerûda, min xwe filtî filtî ji nav lepên helbesta wî rizgar kir.Û baş bû ku zû hatim girtin, ku hepsîtiya bi qasî hefteyekê bû sedêmê qutbûna 'sewta'' min a bi tirkî.

Lê, derxistina'' berstûkê'' ji nav lepên tirkî ne evçend hesan bû. Her ku min berê(119) da kurdî, tirkî mina cendirmeyekî diket pêşiya min, û dixwest min dagerîne ser rêya Ahmed û Cahît û Sûreyya...

Zimanê ku di destpêkê de min lefzek jê nedizanî bi karteka bîrdoza çepgir re xwendina çavkaniyên têgînî û perwerdeya 14 salên dûdirêj, rewş û derûn û kesayeta mirov ya derizî û tîş-tîşî eyan beyan derdixe holê!

Di gel vêya, bi min li gel zanîna zimên, hilbijartina zimanekî (bo afirandina û hunerê)dawiya dawî qîm e.Û biryar bi hay bê hay- hilbijartina nasnameyekê ye;pê re warê jiyînê ye, çiyayên dildariyê ye, rêça têkoşinê ye. Xaniyê pirrziman ji ber dengê dilê xwe û spîtiya şîrê xwe ne farisî, ne erebî, ne osmanî; kurdî hildibijêre.

Di nava tevgereke ku her tişt; bangeşî, diruşm, gotûbêj, nîqaş... û peywendiyên rojane berê xwe didan evrazên tirkî; payîzekê, roja li ber zenûniyê ji nişkê de biriqî û hilat:Tîrêj!.
Ev roj roja zimanê kurdî ,roja Başûrê Helbestê bû: bi pertewnavên mîna Rojen Barnas, Filît Totanî, Berken Bereh, Mem Ronga, Arjen Arî... tîr bi tîr kurdî !

Li ber sîbera ala bi das û çakûç û Sirûda Karkerên Awusturya û helbesta Nazim, A.Arîf, E.Gokçe, Hasan Huseyin... peyrevên Xanî xwe rakêşandin rişma hespa helbesta kurdî. Wê demê jî li gel rewşa siyasî û civakî; sînorên heyî, xaka qet qet, pirrzaravî û elfabeyên cida weke îro sedemên bingehîn ên bêpeywendîtiya navxoyî bûn. Jixwe, di demeke ku hemû hêl û bergehan berê xwe dabin ,Werza Şoreşa Gerdûnê', li Bakûr helbesteke bêkarker û cotkar, peyveke bêlayan û xwerû neteweyî ne gengez bû. Vê negengaziyê ji zû de bi ristên Seydayê Evînê Cegerxwîn re li deriyê helbesta kurdî dabû:

*Hey pale pale pale*
*Das li malê betal e*
***.
*Peleya(126) genimê sor*
*Patozan qore qor e*
*Palan hawî da dor e*
*Çavê maldaran kor e(35)*
***

Arjen Arî'yê ku xwe hê jî weke şagirtekî Seyda dibîne, wê demê bi helbesta Seyda re ''teriya helbesta' xwe weke ku bixwaze' biqusîne' van ristan lê dike:
*Tevrik tevrik tevriko tevriko*
*Ber tayê pembû xweş biko,tevriko*
*Roja me jî hindiko tevriko*
*Maldar bi qurbana miko,tevriko**
Tevrikvanî di hînna havînî de bila di ber tevrikê re van ristan bikin dûrik, Arî dixwaze dengê xwe gurrtir bike, ji kolanên wê navçeya ji tengala xwe de bi kêra sînor birîndar, bigihîne hemû paleyên li qad û kolanên herêmê, û wisa diqîre:
*Roja pala erzan e*
*Kufletê mal giran e*
*Mala te xira be maldar*
*Ma qey tu pê nizane!**

Di serdemine guherîn û veguherînên civakî de,li çar nikarê dinyê gelek caran şairekî bi tena serê xwe kariye bibe destpêka babelîskeke edebî... û di heman demê de dengê şoreşê,direfşa peyvê,peyama serxwebûnê. Li vir, ku em çend navên li ser erndîgara xwe ''tofan'' li rûyê gerdûnê jî bi hêza sewta helbesta xwe ''babelîsk''

rakirine bi bîr bînin:li Emerîka Latîn Pablo Nerûda, F.G.Lorka, M.Hernandez e; Li Yekitiya Sovyetê Kurê Şoreşa Sor Viladîmîr Mayakovskî ye, li Felestîna "muhtell" Mahmud Derwîş e, li Tirkiyeyê Nazim e,li Kurdîstanê Cegerxwîn e...

**KURDİSTAN:QETEK ŞOREŞA GERDÛNÊ!**

Dibêjin, "merivê feqir du caran bi kincên xwe şa dibe;dema ku dikire,û wexta ku pîne dike".

Dema ku caw ne yê meriv be û kiras ne ji bo mirov hatibe fesilandin, meriv serê xwe tê rake...hingî dê bişibihe çi? Weke biwêjekê neyê bikaranîn jî -ji ber ku kinc û lîbas pirr û erzan in êdî- di jiyana rojane ya kurdan de biwêjek dihat gotin:

Sêwiyê ku eba bavê xwe li xwe ke!

Piştî kirasê 1400 sal berê, ku li ber siya şûrê dudev hate li xwe kirin, kurdan zend û bendên xwe hildidan bo lixwekirina kirasekî din.Ev kiras kirasekî fere, pirr-zendik,derdaw-gerdûn bû.

Bayê Sewra Sor, bayê nişmî û nesîmî weke gelek tiştên derengmayî, piştî heftê salên xitm di ser çiyayên Qefqas,di ber kevî û deviyên Bahra Reş re, weke mizgîniyekê bîne û bê, pêl bi pêl weriya bi ser ax û çiya û newalên welatê di nexşeya cîhanê ya siyasî de kitm!

Berî ku li dev û rûyê ma bide, kurdên Kurdistana Sor peyv dabûn ber destê vî bayî,vî bayê ku qesta me dikir û dihat :

*Xebar hatin sehera*
*Delêl hatin sehera*
*Kurmanc ketin deftera*

Bir nakim ha bîr nakim
Navê Lenîn bir nakim...*(36)*
Ev çend rist ji salên 80î de di bîra min de ne,nizanim yên kê ne.

Me li jor jî gotibû, berî salên heştêyî bi çend pêlikan, bayê guherînxwêz yê sosyalîzmê dûrikên paleyên tevrik û liqatê yên weke "her bijî bavê İdrîs/bikuj wan xayinê pis"û sirûda" herne pêş herne pêş/dewr û dem ya we ye/welat çav li rê bendî ware me ye",veguherîn stiran û sirûdên karkeran; navê Barzan û Şîmal şûna xwe dan navên Lenîn û Stalîn...
Ev pêla guherînê  bi civakê re çanda civakî, jiyana rojane, xewn û daxwazên gel, armanc û mebestên rêxistinî guhert; li Bakûr têkoşîn kir qetek Şoreşa Gerdûnê!Di rewşeweke wiha de, qelemdaran jî weke hemû endamên civakê pahra xwe ji vê guherînê wergirtin.Ev pahr weke ku dê ji helbestên Seydayê Cegerxwîn jî diyar bin,bi şêweyekê din, bi teşeyekî zor nêzî Futurîstên Rûs, di destpêka jihevkuştinên du hêzên bîrdoz-cuda de weha dibû helbest :

*Burjuwaziyê bicuk*
*Teq*
    *teq*
        *teq*
*min yek kuşt...(37)Kovara Tîrêj,1979,jmr.1*
Mem  Ronga, bi hest û bihîstyariyeke helbestkarî li hemberî kuştinê-em bibêjin birakujiyê-
radiweste :Ronga bi helbestê biz û liv û tevgera xortaniya kelgerm ya ku hiş û hişmendiya xwe ji

bîrdoza 'burjuwaziyê'werdigire bi şêwazek biçûkker, bi peyvine kurt û bi kirp, dest bi avakirina avahiya helbesta xwe dike.

*Kuştin, tu-kuştin, xwe-kuştin**
*Dujmin bira kuştin, xuşk kuştin*
*Bira bira kuştin, xuşk kuştin*
*Xwîn bi xwînê nedihat şuştin*
*Bira bi xwîna bira dest şuştin*

Diruşmên "Karkerên Cîhanê Bi Yek Bin", "Bimre Koletî Bijî Serbestî" nekarî bibe hevpariya gewre bo yekitiya rêkxistinên wê demê. Bayê Biratiya Hêvî û Wekheviyê, banga yekitiya karker û gundiyên belengaz, bayê spêdeya Şoreşa Sor ji nişkê ve bû bayê şer û berizîna navxweyî. Du hêzên têrhêz li ser xaka têrxwîn dest bi xwînrêjiya hev,ango birakujiyê kirin.
Ev tevgera ne li rê, ku civak ne li bende û bendê, bû sedemê şikestina hêviyên kedîkirî.Bi nûçeyên kuştinan re destê tirsa dilhejên, xofa mişt kul û mitale weke gelek caran hat û di mêlaka jiyana civakî de tevna xwe verist.Serê sihareke teng ne bi kurte- pistî; bi megafonan daxuyandina derbeya leşkerî, bû dawî û qutebiriya xewn û xeyalên civaka serxwebûnxwêz....

*bayê payîzê*

*evqas asaq, û şîn û girî*
*evqas hepsên tijî kirî;*
*bayê payîzê ma çi nekir,*
*ma çi hişt ne xerakirî!*

*ji wê sibê heya niha*
*nesekinî li tû ciha.*
*kesek bi me ve negiha*
*ma çi hişt li devê derî?*

*geh bi girtin û kuştinê*
*berê me da tim mirinê*
*li pêş çavê vêqa dinê*
*em xistin nav şîn û girî.*

*ev du sal e, bi roj û meh*
*yeka me kir, li me kir deh*
*li vî welatê mêtingeh*
*ma çi hişt ji me ne birî?*

*dewran e, dem wilo nare*
*geh payîz e, geh bihar e.*
*zordarî qet nebû çare*
*di dîrokê de, ya bihurî!*

## Lİ BEXTÊ BAŞÛRÊ HELBESTÊ HİLATÎ, DU GELAWÊJ:
## REWŞEN Û NÛBİHAR

Piştî bêdengiyeke dûdirêj, ku"li şûna pezê pirr, man du kavirê kurr“ helbestê jî ji Bakûr bi baskên qulingên koçber re berê xwe da tixûbê biyanistaniyan, kûrahiya erdnîgara Rojava.Ta wê salê, sala 1992wê. Weke cerîdeyên berî û piştî Komarê, li Stenbolê bi weşana kovara Rewşen, Nûbihar û rojnameya hefteyî Welat re, helbestkarên ku di heşargehên şerê dereng mayî de

li hêviya çirûskekê bûn, ji qorzî û qawêrên xewlana tirsê, daketin qada helbestê:

Sabah Qara, Rênas Jiyan, Lal Laleş, Îrfan Amîda, Kawa Nemir, Cîhan Roj, Remezan Alan, Dost Çiyayî, Serkeft Botan, Şêhmûs Sefer, Îlhamî Sertqaya, Miraz Ronî, Zahir Qayan, Mazhar Qara, Çiya Mazî, Kejo; bi dû re Recep Dildar, Yıldız Çakar, Rehîm Qoserî, Hesen Qeya, Îlhamî Ozer, Cemîl Denlî, Mem Bawer; niha jî Hemît Dilbihar, Fatma Savcı, Ehmet Ronîar, Aydin Orak, Gulîzer…û gelek helbestkarên bêdîwan: Elixan Lolan, Dilber Hêma Rodî Zerya…û hwd…

**Arjen Arî**

## Çavkaniyên nivîsê:

**Boraboz,Şa'irê kurd yê berî zayînê*
**Xalit bîn Welîd*
*1/ Mem û Zîn,E. Xanî,rp.38*
*2/Şi'îra Boraboz,Malpera PDK Xoybûn/*
*Di Dîroka Kurditan de Dêrsim,N.Zaza,Wş.*
*3/Di Dîraka Kurdîstanê de Dêrsim, rp.22*
*4/ Baba Tahirê Uryan,Du Beytî,Sabah Kara,Wş.Nûbihar*
*5/Kovara Gulan Jmr.2 Rp.62*
*6/Baba Tahirê Uryan,Du Beytî,Sabah Kara,Wş.Nûbihar*
**Peyva Pêşiyan*
*7/Kovara War, jmr.2*
*Peyva Pêşiyan*
*8/Zarathuştra/Gatalar,M.S.Bîlgîn,Wş.Doz*
*9/Mem û Zîn,E.Xanî,rp. 64*
*10/Herekol Ezîzan,Hewar, jmr.33*
*11/H.Mem,Mamosteyê Sêyem:Xanî*
*12/Helbesta H.Q.Koyî/Li Mala M.C.A.Bedirxan,Firat Cewerî*
*Wş.Nûdem.Rp.94*
*13/ Mahmût Lewendî*
*14/Dîwan,Melayê Cizîrî*
*15/Şi'îra Elî Şêr/Feqî Hiseyn,K.Jiyana Rewşen,Jmr.40*
*16/Beşek ji Stirana Evdalê Zeynikê*
**A. Arî*
**Peyva pêşiyan*
**A.Arî*
*17/Dr.Arif Hîto*

*18/Ez Reşîtê Kurd,weşanên Avesta*
*19/ Seyid Eliyê Findikî,Dîwan,Wş.Nûbihar,rp.35*
*20/Cegerxwîn Sewra Azadî,rp.60*
*21/Cegerxwîn,Kîme ez,Wş.Avesta,rp.129*
*22/Cegerxwîn,Sewra Azadî,Wş. Avesta,rp.166*
*23/Ji devê Seyda Şêx Mizbeh*
*24/Ji devê Seyda Şêx Mîzbeh*
**Ev peyva Cegerxîn bi xwe ye*
**A.Arî*
**Peyva Pêşiyan*
**A.Ari*
*25/Faîk Bûcak(Ji arşîva Seîd Veroj)*
*26/Koma Mizgîn*
*27/B.Bereh,Kovara W jmr.9*
*28/B.Bereh,Heman Gotar*
*29/B.Bereh,Heman Gotar*
*30/Sorê Gulê,Suleyman Dmir,Wş.Nûdem.Rp.59*
31)Bila Gotineke Min û Te Jî Hebe,Omer Dilsoz,Wş.Berçem,Rp.64-65
*32/Rojen Barnas,Li Bendava Spêde,wş.Tîrêj*
*33/Rojen Barnas,Milkê Evînê,wş.Nûdem*
*34/Rojen Barnas,Milkê Evînê,wş.Nûdem*
*35/Cegerxwîn,Kîme Ez,Wş.Avesta,rp.143*
**A.Arî*
**A.Arî*
*36/Ev rêz ji salên 80yî de di bîra min de mane,mixabin nizanim şair kî ye.*
*37/Kovara Tîrêj**
**A.Arî*
**BayêPayîzê, A.Arî*

**1980**

1. Rojen Barnas
2. Berken Bereh
3. Arjen Arî
4. Mem Ronga
5. Sabah Kara

**1992-2007**

6. Rênas Jiyan
7. Kawa Nemir
8. Lal Laleş
9. Îrfan Amîda
10. Sekeft Botan
11. Cîhan Roj
12. Osman Mehmed
13. Dost Çiyayî
14. Cemîl Denlî
15. Yildiz Çakar
16. Fatma Savci
17. Bêrî Bihar
18. Gulîzer
19. Hasan Kaya
20. Ehmed Ronîar
21. Bro Omerî

22. Miraz Ronî
23. Dîber Hêma
24. Kalê Qurdîsî
25. Mem Bawer
26. Recep Dildar
27. Zulkuf Kîşanak
28. Çetîn Satici
29. Şêxmûs Sefer
30. Hemîd Dilbihar
31. Omer Dilsoz
32. M.Zahir Kayan
33. Muslim Aslan
34. Aydin Orak
35. Ilhamî Ozer
36. Zekî Kayar
37. Dilbêzarê Bêkes

## ROJEN BARNAS

### JÎNENÎGARÎ

Di meha 11 ya 1944 an de li Farqînê hatiye dinyayê. Xwendegehên sereta û navîn li Farqînê, lîse û Enstîtuya Perwerdehiyê li Diyarbekirê xwendiye.

Li xwendegehên navîn ên li Maden, Siliva, Suruc,û Muğlayê... û herweha li lîseya Farqînê mamostetiya edebiyatê kiriye. Ji 19 ê Tîrmeha sala 1982 vê de li Stockholmê wek penaber û bi malîtî dimîne. Xwediyê şeş zarû û pênc neviyan e.

Li gor ragihandina Barnas,di sinifa dawîn a xwendegeha navîn (1959-1960) de bi tirkî dest bi nivîsandina şi'rê dike; ev pêvajo bi navbir heta salên 1964-1965 an dewam dike.

Barnas di pey ku bi awakî aktif dikeve nav tevgera kurdperweriya siyasî,dev ji nivîsandina bi tirkî berdide û dest bi kurmancî dike. "Çûm Diyarbekirê" û "Şîretên şêx, axa û began", du şi'rên wî ên bi kurmancî yên herî pêşîn in.

Dema ku ji bona derxistina kovareke edebî û xwerû bi kurdî teklîf lê têt kirin,Barnas di payîza 1979 an de dev ji dersdayina bi tirkî berdide; û bi hevalên xwe yên dîtir re dest bi derxistina kovara Tîrêjê dike. Sal têneçe bi destdanîna leşkerî ya 12 Îlûnê re weşana Tîrêjê radiweste.Bi gotina Barnas, 'di Hezîrana 1982 an de

cîhêla' dibe û têt Stockholmê. Ew hê jî li wê derê bi malîtî dimîne.
Rojen Barnes ji şi'ir pê ve çîrok, bendên edebî yên li ser ziman û çandê nivîsîne,şi'ir û nivîsên wî di kovarên wek Berbang, Çarçira, Hêvî, Nûdem û w.d de derketine.
Barnas dibêje,'şa'irî û nivîskariya min ya nan jê xwarinê nîne, ya ji bona kêf û meraqê ye. Jiyana min a aborî li ser karê min î memûriyetiyê ye ku tu têkiliya wî bi kurdîtî û bi nivîskariyê re tune ye.
Rojen Barnas hê jî dinivise, û dibêje,' Ka em binêrin heta kengê..!'

**Berhem**
Li Bandeva Spêde ,Weşanên Tîrêj,1979,
Heyv Li Esmanê Diyarbekir 1983
Milkê Evînê,Weşanên Nûdem, 1995
Hingê,Weşanên Nûdem,Kurteçîrok, 1997
Bi Kurmanciya Gewr,Weşanên Nûdem,(bend û nivîs) 2005

## MİN NAVÊ XWE KOLA LÎ BİRCÊN DİYARBEKİR

Min navê xwe kola Li bircên Diyarbekir
Gava ku stêrk
Li esmana stûxwar
Gava ku
ney û bilûr û tembûr
û dehol û zirne
sar
bûn
Û cobar
Nedixuşîn di nivînên xwe de seraser
Sosin û beybûn û rihan
Ne d' bişkifin di bûtikê de.
Tariyên giran Tûj û kûr
Bi zûrezûr û bi orîneke jakaw
Bê fikare,
bê paxav
dihelişî
dikumişî
li ser welatê min

Bi giyanek pola
Min navê xwe kola
Min navê xwe kola li bircên Diyarbekir
Wek babelîsk
Wek moraz
Wek bagerek gurr

Min eniya têkoşînê vekir
Min di eniyek de şer kir
li hember xwînxwara
Bi dilawerî
Bi bîrûbawerî
Min têkoşîn û berberî
kir
Û
Min navê xwe kola li bircên Diyarbekir
Ez welatparêz im,
Ez mirovperwer im,
Ez li ber bircên Diyarbekra rengîn
Şêx Seîdê kal,
Bijişk Fuad im
Ez Bavê Tûjo me lo!..
Şoreşger im.
Min navê xwe kola
li bircên Diyarbekir
Dema şefeq da
di Sîpan de
Dema ku lêvên esmên
Di sînga Sîpan de sor dikir
bi beşerûkî
Ez
Di Deriyê Niştîmanî de ketim hundir
Min
Deriyê Neteweyî bi zerzenga xemiland
Û li ber Deriyê Serxwebûnê
şer kir
Bêweç mabû baxçeyê Deriyê Felatê

Min tê de
Şaxên serbestiyê çikand
Tovê xawêndariyê werkir.
Min navê xwe kola li bircên Diyarbekir
Ez Şêx Seîdê ka!,
bijîşk Fuad im
Pêşmergekî bê navûnîşan
Û qevdek ji pincara welat im.
Ez duh şehîd bûm
Îro, nûhat im.

## HESPÊN ME

Hespên me,
Rabûn pêdarê
Li bandeva
şîrrîîîn ...
Ji pahnava
Weka lehiya Adarê Li qûntarê
dakişîn
Herikîn, bi serûber
şîrqîîîn
bi nalan ket,
çirûsk hilfirîn
ji dewsên sima
Çirûskên zer û hêşîn
Mîna brûskên di biharê
Û hespên me
Li ber sîngên xwe
Vereşandinên taristanî
paşve
Dibirin
Dimaliştin taristaniyê
Hela dikirin
Binê kortalê.
Hespên me beza,
sergiran,
xawêndar,
şareza

Û di rêla da
Mîna ba
Diçûn
Li rêl û deviya
Mîna ba ...
Qumriyek stranek distra
Li ser devê riya me
Qumriyek
Li ser kemê danî
Û stranek rist
Li wê berwara
Li pêş Silêmanî
Pê re
Qumriyan dest bi govendê kirin
Govend dest pê kir bi Botanî
Ciwanî
li Diyarbekrê,
li Hoselê.
Li bandevên Agirî eyloyên serbilind
Û Li Mûnzira pîroz
Masiyên sorîn
Bihîstin
Pêjnandin,
çêstin
Û leyistin
Li berê dîlanek

Dîlan geş bû
Dîlan fere bû qor bi qor
Li ser piştên hespên sor
Çarmedor
Dîlan dest pê kir
Dîlan
dest pê kir
bi govendê
Şîrrîîîn bi zirnayê ket
Gurmîn bi deholê
Hesp
Li ser neynokê sima
Filitîn ji pêkolê
û qor bi qor
di govendê de kişîn.
Hespên me Çeleng
lexgîr
Lezgîn
Ketin serê govendê
Hespên me
Di serê dîlanê de meşîn.

## EZ MENDALEKÎ ÇAR SALÎ ME, MAMO!

Ez mendalekî çar salî me, mamo!
Ez mendalekî çar salî
Li kolaneka Mehabada xopan mame
Li kolaneka Mehabadê
Kolanên Mehabadê xir û xalî
Roj,
Mîna kiloreka rûnî, ji genimê sorgul
Ku di tendûrê de sorgizirî
Di şebaka me de,
li rojhilat
li esman
ji min re
Wekî bişirandinên dayika min dibişirî
Û
Ez nizanim çawa bû, mamo!
Çarşevek ket navbera me
Mîna cubê Îmam Xumeynî tarî
çarşevek reşvegerî
Û
Mîna tavanê teyrokê
Agir barî
ji balafiran bi diyarî
ya sala mendalan
li me.
Ez mendalekî çar salî me, mamo!
Di sala mendalên dinê de
Ez mendalekî çar salî

Li hewşê;
pitik li ber dil,
pitik li hembêz
laşekî,
Laşekî parî bi parî
cenge cenge
ji bombeyên mêtingehkarî
Ew laş yê dàyika min e.

Ez mendalekî çar salî me, mamo!
Ez mendalekî çar salî
Ragihînin Dehakê virnî Îmam Xumeynî
Bêjnê:
Te Mehabadê xopan kir,
lê
Li ser kavilê
wê
mendalekî çar salî
Niha
Bi avakirina Mehabadek nû,
bilî
Ez mendalekî çar salî me, mamo!
Ez mendalekî çar salî
Ez niha malokan çêdikim ji xwe re
Ezê ji malokan ava kim Mehabadê
Mehabadek ku
Ji avahiyên xweydana min xemilî

## DÎCLE Û FİRAT

### Du Perî

Di destpêka zemanekî nesalixdayî
Ku zeman hê nêremok
Û avis bû bi tarî û roniyê.

Ji alîkî bêalî
Ji batin
Du kevok
Bi fir
hatin
Geriyan li bilindayiya, li pehnayî
Noqî kûrayiyê bûn, brûskasa...*
Warek ji xwe re hilbijanin
Danîn li erdê
Xwe şelihandin ji post û kirasa

Gêran bi periyan herdû kevok:
Du perî;
Du keçên xama
Du perî
Cêwîkên hêkekê
Ketin temêlşa erdek raxistî:
Bi berrî û deşt, konik û pehnav
Bi çiyayên bilind û geliyên kûr
Ku xelek xelek di hev de bestî.

Jê hez kirin,
Pê şa bûn,
Û jê ecêbmayî.
Mîna reqasa
Ketin govendê.
Stran ...
Ji stranan govend geş bû
Govend girtin, ji govendê stran kemilîn
Xulxulî kete erd û esman
Maka cêwîkên tarî û ronî
Ya di ber tengiya zayinê de
Li ber govend û stranên wan ji xwe ve çû,
Raza
Barê xwe danî
Û za
herdû cêwîkan;
'Tarî û Ronî
Sar û Germ'
Ku li pey hev in
Lê ji hev cuda
Ne di êk hev de
Û ne bi hev ra.

Stran geş bû
Govenda keçperiyan
Hingî çû germtirîn bû
Hingî çû xweş bû,
Li ber nazdariyên Roniyê.

Govendeke xweser;
-Bakur û başûr ve jorejêr,
Rast û çep ve l' berayî
Rast û çep ve l' berayî
Bê ser û bê dûvik
Bê haf û hember-
Dest pê kir
Ku Perî
Hê bêtir lê sor bûn.
Ji ber gurmîna pehniyên wan
Bi sar û germê
Du serkanî derbûn,
- Milkanî digel-
Zan ji destpêka zemanekî bêdestpêk
Distrên û di govendê de ne hê jî
Dizên ta dawiya zemanê bêdawiyê.

Rawiyê efsanê riwayet nake
Ku çawa Keçperî warqilîn lê.
Lê, bi navê xwe bi nav kirin herdû nûzayan
Yê yekê Firat, yê dinê Dîclê

**2.Mezopotamya**

Di hembêza Firat û di palşila Dîclê de
Axek hêşîn bû seraser
Bi berrî û deşt, konik û pehnav
Bi çiyayên bilind û geliyên kûr
Xakek bikûrahî zayok
Erdek li berayî bi xêrûbêr

Xweza bi şîranî li vê der
Dergûşa pitika şarsaniyetê
Hejand bi evînî, bi nazdarî
Gel tê de afirîn, gel tê de rabûn
Gel ku mora xwe li sînga
Zanîn û şarsaniyeta mirovî xistin
Le hê jî kes nizane ka gelo
Bi ku ve çûn
An ji ku hatin.

Ev Milk

Di hembêz Firat û di pşila Dîclê de
Evîn germ e,
Hezkirin;
Kûr û zirav û dirêj
Esman bibext
Û zengîn
Ji dayînên esmanî
Erd makeyek biber e,
Dizê bi dîlovanî

Ji esman hatin em,
-Wek kurd-
An
Ji erdê hêşîn bûn bi awakî?
Kengê ... çawa ... çilo…
Peyda bûn li vî xakî?...
Kes nîne bersiva vê pirsê bide
Û bîra tarîxê jî ji heq dernayê.

Tiştê tê zanîn
Ji destpêka zemanekî nebinavkirî
Em li vê deverê ne.
Me gêra vî xakî kire war
Û vî warî kire milk
Me xwe jê re feda kir
Ji silqê safi.

**4. Pêrgîn**

Rabin pêrgînê xwenasîn
Xwezanîn rabin li piya bipên
Mizgîna serîdana vejînê ye
Bibên.

Bihîstin helbet
Bihîstin xwenasîn û xwezanîn
Li piya stran bi dîlok, bi bêlûte
Û stran stranê
Ji devê min û te.

Dîcle - Firat jiyan e,
Jiyan kurt e li berê.
Ji destpêka bêdestpêk
Hetanî serbiserê
Delala ber dila ye
Dilê b' tijî keserê
Ma gela emê çawa
Canê xwe nedin l' serê?

Dîcle - Firat xwîn û can,
Laş bi xwe Kurdistan e.
Bê laş ma xwîn *çi* tişt e?
Xwîn û laş pêkve can e.
Ger Kurdistan behişt e,
Bê kurd behişt xopan e.
Gava behişt ji dest çû
Cîhan êdî zindan e.

## 5 ·Di hembêza Firat û di paşila Dîclê de

Di hembêza Firat û di paşila Dîclê de
Çiyayên bilind hene;
navserên wan
Hêlînên eyloyan in: Eylo serbilind...
Ûwarê
çêra berxikên me.

Di hembêza Firat û di paşila Dîclê de
Gelî hene; bi rêl in, bi kaş û bi rizde ne
Kûvî tê de digerin;
Kûvî ji mêj ve
Nêzenasê gir-rik û evîna me ne.
Di hembêza Firat û di paşila Dîclê de
Deşt;
ta çav ji çava biniqînin rast
Rast hene; tê de asik diçêrin,
Bê paxava ji benderihek
Hespên me yên beza tê de digerin.

Di hembêza Firat û di paşila Dîclê de
Milkek heye li raser esmanekî bêdawî
Li kadiza wî stêrkin hene
Navên wan ji beriya b' hezarên salan
Me danî
Û ew
Bi delalî
Diçirisin.

# BERKEN BEREH

## JÎNENÎGARÎ

Berken Bereh sala 1954ê li Şirnexê hatiye dinyê. Dibîstana seretayî û lise li Şirnex xwend, Înstitûya Perwerdehiyê qedand. Hê di heftde saliya xwe de tevlî refên welatparêz bû.Di sazî, komeleyên siyasî û demokratîk ên kurd de weke rêveber kar kir.Ji ber kar û xebata siyasî sê caran hate girtin û qasî 16 mehan di hepsê de ma.Piştî vê girtinê,deh salan ji karê mamostetiyê hate dûrxistin.Helbestên wî cara ewil di sala 1979ê de di Kovara "**Tîrêj**"ê de weşiyan.Berhemên wî çi helbest,çi gotar-di gellek kovar û rojnameyan de (Tîrêj, Nûdem, Peyv, Rewşen, Jiyana Rewşen, Kevan hwd) hatin weşandin.Di pêşbirka TUHAYDERê sala 1998ê de(Komeleya Piştgiriya Girtî û Hukumxariyan)xelata yekemîntiyê, û ya Jiyana Rewşenê-1999ê de jî xelata duyemîntî a helhelbestê wergirt.Ji bilî navê Berken Bereh,bi navên mîna; Argeş Amedî, Serwer Botî, Mem Bêtîr jî nivîs û gotar nivîsandin.

Berken Bereh dîwanek bi navê "**Şîna Helbestê**"ji bo çapê amade dike.

Bereh li welêt dijî, bavê sê zarokan e, mamostetiyê dike.

**Berhem:**
**Êş**-Weşanên Sî-2002
**Şagirtên Evînê** Weşanên Sî 2004
**Pandomîm, Wesanên Belkî,2006**

## HELEBÇE

em bi hevre mirin mirovno!
pênc hezar insan
ne şinahiya asîman
ne xweşikbûna kûlîlkan
û ne jî berbangên awaz-çivîk xema me ne êdî.
stranên me yên evîniyê rawestiyan
lê negerin
naxuye
di bîbûkên me de jiyan.
ji xwe em xizimê hev bûn
xewin û xeyalên me wekhev
em bi hevre mirin
pênc hezar insan.

**pîr û kal**

min tu car nebîhistibû dengekî wiha
bêhneke wiha min nekişandibû cerga xwe
derewan nakim.
dibe ku kêla min ne ji mermerê bûya
an we kûlîlkek neçikanda li ser gora min.
jixwe
nîvmirî bûn em
tirsiyam dîsa jî
derewan nakim.

lê ew zarok çima bi me re ne
qey wê ne jiyan
bê nasnav be jî

an xizaniyek bi xedar.

**dergûş /**
çi bêjim bê feyde ye
hatin û çûna min bi hev ra
jixwe
hê nav jî li min ne hatibû kirin

**dayik /**
va bêbavan
pirtûkên pîroz jî ne xwendine
ji evînê bê par in
berxê min di dergûşê de ma
destên min bûn dareke hişk
û me hev hembêz nekir

**zarok/**
min digot qey
ev jî lîstokek e
hey hawar dikim
kes nayê banga min
goga bavê min îro kirî jî
ma li hewşê de
wê kî pê bilîze gelo
kes ma?

**mamoste/**
çiqas li min xweş dihat
evînê hînê zarokan kim
hevaltî biratiyê
hê zengila betlanê lê nexistibû
ev mirin çima
û li depreşê nîvco ma

nivîsa miroheziyê.

**axa /**
ev çend mal û milk
ev çend dirav û zêr
û bêdadiya min...
nekarî rawestîne mirinê
min digot wê emê ne tê de bin
çima em haydar ne kirin?

**xort /**
min gustîlkek kirî bû
ji bo gulbihara xwe
va em bi hev re çûn
wê ya bidin yeke din
min ji bo wê hewce nema

**şivan /**
hê nû zayî bû
kara bizina bedew
yekcar şîr nemêtibû hê
li ber xwe nakevim,bizanin
me bi hev re veşêrin
di bextê we de me
bi segê har re.

**xweda/**
ez jî şaş mam bawerkin
kê destûra vê komkujiyê da
li min biborin
ketime bextê we!

**Mirovahî /**

hûn bi hev re mirin
bi wekhevî bi biratî
rûreşî para me!

**dîrok /**
bû deqek tenî
rûnişt li ser eniya min
navê te Helebçe

**helbestvan /**
kê digot
wê hevqas bi wate be helbesta me
ku tu carî pênûs a min
xwîn ne rijand.

***EZ HÊVÎ DİKİM JÎ WE, MİROVNO***

***BİLA KES Lİ DERİYÊ DİLÊ MİN NEXE ÎŞEV***

***DİXWAZİM BİGİRÎM***

***TÊRA XWE!!!***

# KİLAMA BAJARÊN TARÎ

Çîroka dem û dewranên tenêtiyê ye ev helbest
li kêleka wêneyê te li çarçoveyeke reş hilawistî ye
awirên te mîna mindalekê şîrîn û xweşkok e
di awêneyan de ezmanekî çîkîsayî
berfa te ya heliyayî di eşqa ewil de.
Min bi keziyên dilê xwe hûnand ev helbest
nizanim kî û kî hene tê de.

Herkesî dinyayek
û herkesî tenêtiyek xwe he ye
Herkes tenê ye dema digirî
dema dibişire herkes hogirê dilê xwe.

Ev bajar qurnefileke sor e
min neqişandiye li aliyê çepê yê şapikê xwe
û min bi bêhna wê şûştiye peyvan
da herkes min binasin.
Bi qasî pîvokan azadî, bi qasî nexşeyê hejar û jar,
çavên şagirtên xwe diferikînim di hundirê xwe de,
her dem te diponijim lê nikarim vebêjim.

Min xortek nas dikir li vî bajarê dişewişe-diltenik û mêrxas bû
dikewicî ji pora delalîka xwe
dikerixî ji vî bajarê qemitî
bi eşqeke şilûpil li ber xwe dida
li hember vê jiyana serobino

Min xortek nas dikir li vî bajarê dikele
mîna dilekî mêrxas vedişart xizaniyê
mîna nêşîrvanekî neçar
li bendeya sibehên spî bû.
Min keçeke ciwan nas dikir li vî bajarê diheze
xweşik bûn çavên wê mîna baranên biyan

Min keçeke ciwan nas dikir li vî bajarê rûkevir
mîna risteke helbestê tîr û bi stêrkan rapêçayî
dayika kovaniyê bû rastî a di bîbikan de
min dikir û nedikir
ne jahra di dilî de kedî dibû
ne jî kovaniya temenê xwe dida min.

Mîna kevokan tên êş û jan li vî bajarî
li her malekê dilê dayikekê dilerize
li her şibakeyekê çavekî bitirs hilawistî
hemû gol şêlû ne
hemû robar li şeveke xizan diherikin.

Malên qurnefilên wan mirî ne
mêvanê wan im her şev
dîsa jî hinek çiyayên
çavên te lê bûne mêvan hene ji bo min
difirin kevokên min ên çil û şeş salan
ber bi bajarên tarî ve.

## DİYARÎ

dêya min hêviya birreke nevî ji min dikir
bavê min doza keriyek pêz
min da dû bayê dilê xwe

ba û bager bira-zava
berf û pûk berbû
bi çiyayekî re zewicîm

min çavekî xwe
diyarî kendalekî boz kir
lingê xwe
bexşî newaleke tazî û kûr

min bedena xwe da axeke sêwî
da sebra xwe pê bîne di rojên teng û tarî de!

# GULNAME

stêrkeke xwînşîrîne her tîpeke navê te
her ku ez wan bi bîr tînim
bi îsîn diherikin çemên bextewariyê
gulên zîvîn vedibin li bexçê dilê min

her keziyek te qevdek gula mihemedî
her ku li ba dibin
xunavstêrkek dibare li deşta tenêtiya min a devzirav
bajarek diherike ber bi valahiya xwe
welatek ji nû ve tê bi nav kirin

çavên te du ewrên zarokwarî
du oqyanûsên bi aram
her ku li min dinihêrî
biharek min dikişîne nava xwe
bexçeyek tê pê ji dengê zarokan

rûyê te pirteqaleke hevrîşimîn e
her ku lê dinihêr im
dinya diguhere di hundurê min de
jinişkave vedibe perdeya heyatê

## PİR Û DÛR

li kûrahiya şeva bi şehwet diherike
neçarim li ber serê êşa xwe
dûr im ji xwe qasî stêrkan,
pîr im li vir bi qasî çiyan

sêwiyek im,ji bilî êşê kesekî min tune ye
li dilê min î sincirî û kavil

mêrga bayên ciwan, çîmenên gumreh
dibêje rizîne bagera di dilê min de
hemû rêl û deşt birçiyê bêdengiyê
hemû siwarî û berbû kor û şeht
hemû robarên diherikin ji sîngê şevê
havêna pêşerojeke xizan dimeyînin

bêpaxav û bêminet digere dolaba heyatê
dizeliqe li asoya şevê ji bîr kirî
awirên min î sar û hewca nalîna dilê min

mîna zarokê deqên wî jê hatî standin
rûniştim li bin dara bîranînan
giriyam bi serpêhatiya xwe ya tehl re

# GULÊ

tu bi xunavstêrkan hatî,bi pêlên bagera gulan
te bi tîna dilê xwe germ kir bedena min a qerisî
di şevên teng û tarî
di rojên sar û seqem de
min xwe avêt hembêza çavên te yên keskeşîn
li kîjan gulê binihêrim tu vedibî jinişkave
navê te tê nivîsîn li rêza ewil a her rûpelê
da dawî nebe ev xewna xwînşîrîn
da neçilmise ev eşqegula di payiza emr de vebûyî
min xwe avêt tor û bextê yezdanê dilovan
tu bûy pêta bizotek agir dawiyê
û te hilweşand hemû kelehên ruhê minê zarokwarî

## DİSELMÎNE

Dixwazim helbestekê binivîsim
Ji giriyên te pêk hatî
Xwêhdanek min digire, sawek min radipêçe
Banga paşîvê dike pîrika min
Roj nîvro
Çar alî qîr û zilmat.
Dixwazim helbestekê binivîsim
Ji janên te pêk hatî
Qermîçek dikevin xewn û xeyalan
Silavên ji dil jî dilerizin
Li ser çavê bajêr êdî tenê toz e
Xwîn e xwe dişo di gepên min de
Bahoz e dimeşe ber bi balgîfan.

Dixwazim helbestekê binivîsim
Ji temenê min pêk hatî
Mindalek porê xwe ji qirêjê şeh dike
Evîn diqefile
Bajar pişta xwe dide xewê
**İi** derek dûr mexel tê dengê te

dixwazim helbestekê binivîsim ji çavên te pêk hatî
bi nazenîn diherike xwîn bi bêhneke binefşî
bi şahî û xweşî serpêhatiyek nû
bajar ji xew radike
rê ji ker û qopan re vedike

rûyê te dawerivandina evînê diselmîne!

# ME JİYAN Bİ XWÎNA XWE MEYAND

Me bi destê xwe girêka jiyanê vekir
Çarenûsa xwe nivîsand
Û bi rê ketim.
ne ziryan karî bi me re bimeşe
Ne siva me karî ber xwe bide
Xweşmêrê dîrokê em bûn
Xwişka heft bira û
Birayê heft xwişka em
Di berbangên argûnî de
Di asoyên binefşî de
Nermenerm
Bi nazenîn
Robarên diherikin
Qulingên bask zêrîn
Û eyloyên heft reng dîsa em bûn.
Yek carê bi tenê ne kuliya dengê me
Lûtkeyên zinaran ji me şerm kirin
Serî tewandin Herekol, Agirî
Bê gilî
Hê jî dimirin Xoşewistên evîndar.
Bi nanê tisî
Bi dizî
Roj bîst û çar saet
Berfmaika gemariya jiyanê
Hilperîna çîna nûjen afirand
Şand
Li çarllledor gerdûnê

Belav kir
Tovê evînê.

Ger hûn dixwazin
Awirekê İi kelepora dîrokê vedin
Ne gelek dûr, hûr û kûr
Li asoyê rêzeçiyayê zagros binêre
Li deviyên reng e reng ên Çîpasê
Li Tamîlên reştehlik
An li newal û dehlikên bajarokan
Ku her dilek bûye agirek
şûna al wêneyek me di dest de ye.
Em kêfxweş in, ferişteyên rûhîv mist didin giyana me
Ji xezal û nêriyan qewmeke nû çêbûye.

# ARJEN ARÎ

## JÎNENÎGARÎ

Arjen Arî di sala 1956'an de, li herêma Omeriya, li gundê Çalê hatiye dinyayê. Di sala 1979'an de Enstituya Perwerdeyî ya Diyarbekirê Beşa Zimanê Tirkî qedand.Weke gelek şa'ir û nivîskarên kurd wî jî bi tirkî dest bi helbêstê kir.Di sala 1976ê de li Nisêbînê ji ber belavkirina belavokekê hate girtin. Wê demê polisan dest danîn ser helbestên wî yên bi tirkî û kurdî.Qasî hefteyekê di hepsê de ma.Ew berdan,lê helbestên wî ta niha di mexzena Dadgeha Nisêbînê de hepsî ne. Di gel, ku weke cara pêşîn kovara Tîrêjê de helbestên wî weşiyan têt zanîn, ya rast,helbesta wî ya ewil di belavokeke ku li herêma Mêrdîn hate belavkirin de weşiya.Ew helbest ji sê malikan/beytan pêk dihat.Malikek jê ev bû: Du mirin kirin mahne, rakirin ling Nisêbînê/Xewa sibê bela kirin,avêtin nav tirs û xwînê. Her wisa,beriya 12ê Îlonê helbestên wî ji hêla paleyên tevrika pembû ve bi stiranî dihatin gotin. Wek:

Tewrik tewrik tewriko, tevriko
Ber tayê pembû xweş biko, tevriko
Roja me jî hindiko, tevriko
Maldar bi qurbana mi ko,tevriko
Tevrik tevrik tevriko,tevriko

An,
Roja pala erzan e
Kufletê mal girina
Mala te xera bibe maldar
Ma qey tu pê nizane!

Bi dû 12ê Îlonê de ew li welêt ma, helbestên wî di kovarên li derveyî welêt;wekî Berbang Kurdistan Press, Nûdem, Çira, Pelîn û Rewşenê de hatin weşandin. Di sala 1992ê li navçeya Nisêbînê li ber deriyê mala xwe rastî êrişekê çekî bû.Birîndar rakirin nexweşxaneya zanîngeha Dîcleyê. Ji wê bûyerê de Arjen Arî li Amedê dijî.

**Berhem**

Ramûsan Min Veşartin Li Geliyekî,Weşanên Avesta, 2000
Ev çiya rûspî ne,Weşanên Avesta, 2002
Destana Kawa, Weşanên Elma, 2003
Eroûtîka,Weşanên Lîs2006

# KULÎLKÊN BİHARA DERENGMAYÎ

her bihar vedibin di çiyan de
di aran de, zîndanan de
her vebûn, her vedibin
kulîlkên bihara derengmayî.

ne sosin e
ne nêrgiz e navê wan
navek din e navê kulîlkên nûgihayî:
di sojan de her bihar ji agir zayî
sor,
soring,
Medya ...
vedibin li Herakol, vedibin li Gebar
her bihar
vedibin li çiyayên bêmiradmayî

bi xwîn bin, bi xwêdan bin
agir de qiçqiçî ger bi jan bin
Seîd e terhek wan, pelek wan Qadî ye
tu bîhn bikî hilma wan Dêrsimî ye
çar şaxan de berxwedan
vebûne Riza, vebûne Barzan, Mazlûm vebûne
hervebûnê de qir-qelanek jiye
li vî çiyayî... li wî çiyayî

û ...
hilmek rizgarî ye maye li şûn wan
kulîlkên bihara derengmayî

li hêviya aran nemîn
kirasê tebaxê wergirtiye adarê, lewra
û çar dem veguhêrîne bihara Arya
her kulîlk canek gorîcan e anha
vedibin kesk-kesk
vedibin zer-zer, sor-sor vedibin
bi her vebûnê re dibizirin
û dişitilin di her dilop xwîn de
bi Medyayî

bîhn bik
hilmek azadî ye tê ji wan
kulîlkên buhara derengmayî

# SİBAT E

nabêje serma ye, seqem e...
ma xem e rê hatibin girtin
kerwan herin, nerin
bûk bihemil bin, zaro nesax bin
ma xem e...
kirasê bûkaniyê li xwe girtiye Nemrûd
sibat e...

sibat e
bin konê mûyî de zivistan
egal xwar kiriye Qerejdaxê.
binpî jî be sipehî ye
li çiyayên welatê min çi tê
egîdî
û spî spî bûkanî...

te sar be
hûûû bike destên xwe germ bik
ezîzê ber dilê min, şervano
kebaniyê ça daniye ser
tifika me de her û wer
ar e
têhna zivistanî

xeynetî ji devê min dernakeve
ne ku çîrok bi tenê dibêje
dîrok wesa dinivîse:

Kawayek hebû
roj bû, bû qirşikek canê me
ew ji destên me hat, ji destên me ew dibû
û me avêt ser arê heyî
ku ar
bû nasnava me

sibat e
çend hezar sal e, çend sed meh
nola buharî hê kêferat e
li her berqef
li her şikeft
û li neh sed û heft çiya
ku... ev ax
welate?!

## TAA FERWERDÎNEK DİN

ramûsanan rêz bikim li gerdena te morî-morî
dûra te himbêz bikim, te...
binêr, ferwerdîn hat û buhurî li min û te û
berê me li payîza umr e
temen buharê de xweş e, evîn di buharê de...

hij te kiribim
şewitîbim li ser te, peritîbim parî-parî
bihêl, sayên xewrevên bela bikin zûrîn
kundokên sewthejar bela bixwînin şevê
gund dihise, bajar dibihîze
daxuyaniya evînê me, li devê derî

pêdikevin çirayên korik
pê re ewan-ewan dertên kolanan rohniyên mirî
dest pê dike kurtepistî, çavnebarî
ketibî ser zimanan tu bi Zînî
û Memê te ez bim heke
şerm meke
veke deriyê dubask
paxila xasxask li min veke
û piştekê bide pişt derî
taa ferwerdînek din
vem-meke!

## MEGRÎ

çenga por bibin bibin
bibin ser gorên dil kuştibin;
bibin bin konên şîn girtibin
megrî çav-deryayê megrî
mijankê te ji kil dibin
megrî por-roavayê megrî
megrî û meke, li min li min!

hijê bike rê û bimeşe
xwe li çiya bigre û bimeşe
umrê te hê çend û şeş e...
megrî meke, li min li min!
megrî bikene li dû min
beşişînê bike rû min
şehîdê dilê te ez bim
mekenîne bi me, dijmin!

## ÇARÎN

kîjan demsalê bipesinînim bi navê te.
rûyê te gulan be, nîsan in hinarkên te.
bihar bi xwe diheside wan çavan
û temmuz didexise j' lêvên te! ..

## BERÊ MİN KETİYE XOZATÊ

zû bi zû nagire
û nabare her sal.
Ji çirra sîr spî, delal
berfê girtiye Berîka Mêrdînê.
tu bibînê, li Çiyayê Omerta tê kabê.
Dibêjin heta adarê ranabê!
Xezala'm mekeve rê,
tu bi ser min ve nabê!..
bi lingên hinekiri min tu divê,
bi porê mifil-mifilî...
di bin hevrîşimiya hepriyê de berbiskên erebî
gerdena te de mircan, bêvilê de xizêm...
xwestiya ji çend salan de yî bûkê,
rahijî buxçikê û tu bê!
nenas î, rêbiyan î, nezan î.
mijeke kor Mûnzir ji erdê hilanî,
û Dêrsim ketiye bextê hikumeta vî zemanî! ..
dîsa dayê ...
xezala'm mekeve rê;
darên berû ta digrin,
tu û vê sermayê!..

mîrekê demê çile ye niha.
tu rê naçe ser riya hêviyê.
çefiyê dipêçim û dikim gilokek xem,
li hêviya adarê ye cehinnem
û ez û tu,
û ez û Mûnzir,

û ez û Tûjik. ..
heft meh e berf e barê me.
ku gur xwe li gur dipêçe û hirç nayê der ji gehê!
dîhnek e,
difîkîne û tê
sirra reşemehê!..

ji êvar de dayê! xezala m'mekeve rê,
ha riya Dêrsimê ha ya Kerbelayê!

egîd im nihîte
û hijde salî
bi min dest pê dikin
çîrokên lehengiya duhezar salî
kirasên berfê tên ku bigrîn,
sê roj e bêzewad,
sê roj e xurîn im.
yanî birçî me mîna guriyê sibatê!
bi destên min ve nayê,
bûye qetek ji qeşê
hesinê vê kambaxê,
polayê vê keleşê!

û berf hê jî tê ...
ne min got; sê roj e xurîn im.
min nêt e te bibînim:
berê min ketiye Xozatê!

## DEM PAYÎZ E

ba qulipî hîv tê werbû
havîn hişk bû stran kerr bû
madê payîzê re zer bû
şeqitî dem li dor û darê

hinar sor in bîhok zer e
li dû quling qaz koçber e
bi gûzê re j'gûn diwere
gewez bûn pel li çinarê

temaşê de lê guhdar im
nala xuşînê ez xwarim
dibêje hejke xembar im
dem payîz e'l sipîndarê

dem payîz e xem payîz e
dilînek bi dil dilîze
nola hemû daran zîz e
hinar û danê êvarê

temen li dû, payîzek tê
buhar biçê havînek tê
ha vê wextê ha vê wextê
kîşwer şaş bûn li min û yarê

## KOL Î POŞMAN

bi parsê ketibim li kolana te evdal
li devderiyê te qereçî
têr bike vî dilê birçî
keçê, ka maçekê!

tê bidî ji gerdenê bide.
ji keviya hinarkê
ji kaniya lêvê
te bivê dibim mêvan
te bivê şevê dikim deman
te nevê, vedigerim ji devê derî dest-vala
û
kal î paşman!

## MİRÎ MİRÎ

min ji te hez kir
pirr pirr pirr
dibû pirpira çivîkan li her qefese
û te, li ber firê çavên xwe kil dikir.
reş bûn ji xwe
zivr zivr, kevanî
reştir dibûn bi kilê siphanî
her çiya hi evînekê bi nav dibû
û te, di çavên xwe de azadî xwedî dikir.

min ji te hez kir
li dû her koçberiyê pirrtir
û gelektir ji xwe ji gelekî gelektir
her ku mirina kevokan dihat tu jî dimir
baz xayîn ketin Sarya min
min hez ji mirina te kir!

# MEM RONGA

**Jînenîgarî**

Mem ronga (memet tanrikulu)yek ji helbestkarên nivşê tîrêj'ê ye. Di sala 1952ê de li farqînê hatiye dinê. Wî, lîse û înstîtuya perwerdehiyê beşa tirkî li amedê qedand û weke mamoste li nisêbîn, mazîdaxê û ispartayê kar kir.ji bilî helbestkariyê edîtoriya tîrêj'ê jî kir.piştî darbeya 12ê îlonê(gorîkariya leşkerî)ji ber kar û xebata xwe ya wêjeyî û siyasî, sala 1986ê weke pirr kesên ji nivşê xwe derket derveyî welêt.ronga li almamyayê dijî, û niha jî karê mamostetiyê didomîne

**Berhem:**
Destên min li destên te digere,
wş.mezopotamya,swêd,1995
Ferhanga tirkî-kurdî,(bi hevkariya podîûm û kitêbxaneya kurdî,swêd,1999

## DERÎNAME

Derî
Derî
Derî
Virda dinêrim derî
Wirda dinêrim derî
Derîkirine herderî

Derî hene dar ji darê kevot-
Derî hesin wek ûr û tirsên yên pişt mezin-

Derî hene derî
Wek derîyên koxan
-li pişt wan
heryek li ser çar darikê bi êş û jan
Panzde serî-

Derî hene derî
Li pey hev bi notirvan
Hin bi bertîlê vedibin
Hin bi firotinê
Derî hene vedibin berdestî sibê
Bi singûyan

Derî hene vebûna wan
Bi satilcanö jana zirav
Bi xêra
Mirina
Zarûyan

Virda derî
Wirda derî
Deverek nema vekirî
Afirandin kilîtek mezin û zingarî
Hin ji qelenö hin ji esalet werdekîya nav mirîşkan-
Avêtin ser derê dilan
Û
  radan

Derî
Derî
Derî
Nabe
Wiha naçe serî

**** ev helbest sala 1978an, di kovara "tîrêj"ê, di hjm.1.de (rp. 35), di bin navê mem ronga de çap bûye***

## SERPÊHATÎ *

Çeq çeq çeq
çeq çeq çeq
Rewş
hoy
zanyarî
tevgirêdan
çi ne.
Bese galegal û gotin
sekin
mirine

Karker tune
gundî razaye
Şoreş
li hêvîya
me pêşevanan
maye

Milek ji pola
dilek xurt
bese
bo vê
Dengê tivingan
dermanên xewê

Req req req
req req req
Min yekî kuşt
bi mêranî
Yekî ku bi me re nedihat jî
li kêlek
danî
Lêxin
hevalno
lêxin
Qemberek
bavêjin vira
yekê jî
wira
Dinyayê bi serê wan de
hilweşînin
Alav/agir bireşînin
bimirin
wekî
mêra

Leq leq leq
leq leq leq
Nebû
lihevnehat
Îcar
gel
li pey me
nehat
... Lê ... Lêbelê ...
Pasîfîst ...
oportunîst ...
revîzyonîst ...
...îst ...îst ... Îst
Îsk
îsk
îsk

Na lo ... Hewa ye
ev gel nehêja ye ...

** ev helbesta hanê li sala 1980, di kovara "tîrêj"ê, hjm2 de (rp. 37-38), di bin navê mem ronga de derketiye*.

## DİYARBEKİR

Tu bajarê kevnare, mezin û bitenê
Bi çirisandinên reşemermer
Û asîmanê xwe î biharî
Di dilê min de leylan didî
Li vê şeva mişextîya kambax

Li berêvarên rojên qêle ku bi ser te de digrin
Û hilma axê dibe agir
Hezar hezar kevokên sipî yên perrbizîv
Xwe li bilindahîya asîmanê şînê zincîrkirî digirin
Bi hêvî û ji nava xwe têr dinêrin li kersaxa dîcle
Û vedixwînin rojên ji kulîlkên sîpan,
Ji ewrên agirî û ji kanîyên mereto

Hezar dilê westayî bîna xwe didin
Di hênkayîya zebeşekî teyê navdar
Ku niha min divê

## TİXÛB

Şevên bêhîv
Evînê xwedî dikin
Niha
Li tixûban
"gulê dêranê..."
Nikarim te bibînim
"çiyayê bilind"  bêdar
Tixûb bi leşker in
Bibîne çewa rastî ye
Ev têl û mayîn

Di tarîyên daweribandî de
Dilêm perçekî ji sibê
Di sorayîya xwe de
Diçirise li tixûban

Lê
Ji bo te rapêçim
Di ewrê serapê evîn da
Niha
Sebrê xwedî dikim
Li tixûban

Nîşan ketîye sibê
Bibîne
Hebûna tixûban
Çewa vediguhure
Tunebûnê
Binêre

## DOR

Zanibî
Dagirtî me
Ji serê mûyên por
Heta serê neynoka pê
Ji tiştên gotinê
Lê
Niha
Ji bilî guhdarîkirina te
Min tu tiştek navê

## HECHECÎK

Baş e
Oxira te a xêrê
Here
Lê
Me ji bîr neke

Eywana me
Bê te nabe
Bê têjikên teyên
Ku her carê bi qaje-qaj
Bi kêf û şayîyek mezin
Bi heytehol
Pêrgînîya jiyanê dikin

Û herr
Tiştek kêm e
Li asîmanê meyê biharî
Bê firra te ya ji rengê herrikînê

Pa çi bêjim
Here
Oxira te a xêrê
Gihîştina banewarê wî serî
Bi dilekî xweş be

Lê çi dibe
Gava ku bihara me dîsa li me pêl da
Çavê min li rêpanîya xwe nehêle
Min ji bîr neke.

**Hechecîk ll**

Ji alîyê min ve frîqet be
Bi dilekî rihet here
Heta hebe mala mìn
Wê hêlîna te jî hebe

Lê
Ne ez dikarim bêjim
Ne jî yekî din
Ev zalim
Wê xanîyê min jî hilneweşînin
Wek bi hezaran yên din
Wê gundê me jî neşewitînin

## ÇEWA

Çewa
„çiyayê bilind bê dar nabî“ hesen
Wer niha binêr
Li xizanîya bi ser çiyan de jî girtî

Ne kevot
Ne berrû
Ne mazî

Nivêja nifirker
Ya
Benîştek,
Benav
Û
Dêndaran
Dibihîzî

Ne dar man
Ne jî daristan
Em man
Li azî

Çiyayên kurdistanê hesen
Ji derdê min û te ra
Şût û tazî

## DÎCLE

Dixwazim
Li ser sîlika peravên te xwe vezelînim
Guhdarî bikim li xulxula strana teya nemirîyê
Avjenîyê bikim li kûrayîyên ava te ya hênika jîyanbexş
Ku çi mûcîzeya derdixe ji axa hişka terklêketî

Bihêle
Li „çerx û berx û merx"ê te bigerrim
Li tarî û çaltikên te yên nepenî
Quncikên destpênebûyî

Hembêza xwe veke
Bila refên kevokan
Xwe li bilindahîyên dilê te yî berz bigrin
Hêvî û xwezîya bimilmilînin

Ji dengê te yî jîrik guhdarî bikim
Ji serî ve dest pêbike
Ji min re
Yek bi yek
Kit bi kit
Vebêje
Evîna kûrtirîn
Strana dirêjtirîn
Ya te bihîstî

Gelên te nasî
Çirisandinên kumzirîyên wan romayîyên ji nava xwe
têr
Tîbûna hespên `ereba
Û wehşeta ji rûyê moxolên kavilker dîbarîya

Kî hat û çû
Kî hebû û ma

Dîroka heta niha bi awakî dinê hatîye gotin
Dîroka heta niha nehatîye gotin

Ava pîroz
Herrikandina zîvîn
Sirrê bêdawîyê
Tu yî kok
Tu yî destpêk

## HESRET

Bes e êdî lûleyên sar
Nûçeyên mirinê
Mezelên hunda

Her sibe ji îroyekê dizê
Amenna
Kî ji we dikare ji min re bêje
Ji îroyeka wiha
Wê sibeyeka çewa bizê

Hesreta aşîtîyeka bêdawî
Reh berdide li kûrayîyan
Li dilan
Li bîbikan
Bi awakî
Ku
Ne tê avêtin
Ne tê rihotin

Lê
Niha
Bêtir xweydan divê

## JİYAN

Ne bi me destpêkir ev stêre
Û ne jî ewê bi me biqede
Straneka bêdawî ye jiyan
Tu meqamê wê xweştir bike

## ZOR

Xwe biparêze jê
Zor tirsonek e
Dikare her tiştî bike

Stûyê xwe li ber xwar neke
Tirsonek û rûşûştî ye  zor
Hingî tu kêm bikşînî
Bêtir êrîşker dibe ew

Nekeve faqa wê
Teqaneka mezin e ew
Hingî here
Bêtir tê de diçî xwar

Divê em biryara xwe bidin
Zor me di ceribîne
Niha

Çiyakî bilind ji delalîya mêjîyê însan
Sûreka xweragirîyê
Û şemala hizkirinê
- ya ku geş dibe û dinyayê dide ber xwe-
Min radipêçe

## ÇARÎN

Bingehê gerdûna ne-afirandî
Ne hewa û agir, ne axû ne av
Yek tişt heye biser û bêdawî
Di guhurîn û qevzan de bizav

## VA DESTÊ MİN

Ne tenê me di vê evînê
Ne tenê
Birayên min hene li çar alî
Li çar alî dinê
Reş û spî, bindest û azad
Birayên min hene li çar alî
Hina rêzil qetand
Hin dikojin

Rûreşîya mirovatîyê
Birîna min î xedar
Mêtingahkarî
Bi tang û top û napalmê
Di sikratê de hovtir
Êrîşan tîne

Bo spêdê pirr nema
Çar perçê dilê min
Yek stranê dibêjin

Dizanim êdî
Hêvî nexweşîn e
Ger nehatibe strehandin
Bi dengê gerran û kerane
Û reh bernedabe
Di axê de

Destê min
Li destê te digere

## SABAH KARA

### Jînenîgarî

Di sala 1960î li Nisêbînê hatiye dinyayê.Derbarê jiyîn,serboriya wî ya helbestî, nerîna wî ya li helbestê mixabin ne xwedî agahdarî me. Lê demek dûdirêj berpirsiyariya Kovara Nûbihar kiriye,di heman kovarê de li gel şi'irê nivîs û gotar jî weşandine.
Kara jî mîna gellek nivîskar û helbestkarên Bakûrî di destpêkê de bi tirkî nivîsiye, paşê rûyê xwe ji tirkî badaye, bi timamî derbasî zimanê bavûkalan bûye.
Sabah Kara li gel şi'rê çarînên Baba Tahirê Ûryan guhaztiye kurmancî, Antolojiya Helbesta Farisî di bin sernavê ' Ji Nîma Yusîc Ta Şoreşê' bi tirkî çap kiriye.
Kara li Elmanya dijî.

**Berhem:**
Mersiyeyên Rojhilat,Weşanên Nûbihar,1998*
Çarîn(Ji Çem Bi Derya),Weşanên Nûbihar,1998
Ji Nîma Yusîc ta Şoreşê
Antolojiya Helbesta Hemdem Ya Îran,Weşanên Nûbihar,1998
Nameyên Bê cewab,Weşanên Nûbihar,1998

# JI BO HEVALÊN MİN

Destê me bi hev ve girêdayî
Histêr durr in di çavên me de
Û tizbî ye li ser gepên me girî
Em di xemê de xem in ji hev re
Û şahî ne, di şahiyê de
Çavê me mirêk in û huzn
Pejn dike ji birînên me
Çavdêrên hev in em hertim
Em ku jibo aştiyê dibêjin
Û em aştiyê dibêjin bi timî
Eşq neqş dibe di gergefa me de
Ji çiçikên demê, em ku sebrê dimijin
Çavdêrên birînên xwe ne em
Dibên "gul" bi birînan û bi wan
Ji lêvan selamê didin
Ew xerîb in ku em
Di kaniya çavan de li avjînê digerin

## BABÊ/1

*Ji bo te Keko*

Geh mirin, a min e
Geh ez, ê mirinê
Dema ku behsa mirinê tê guhê min
Eger bi ya min be, ez ê bêjim
Bila nemrin bavê zarokên biçûk
Ku xwîn digrîn ji bav re zarok
Em ku di hesreta bav de ne hê jî
Ma wê çi bikin di wî umrî de zarok
Eger bi ya min be, ez ê bêj im

## BABÊ/2

Ey ê ku çav di kenê de mîna du heyvên li şevreşê
Li stêrkan were rehmê, wan nehêle di şevreşê
Weku cilê xwe yên nû di erefa îdê de
Razîne dilê min ê dîn
Di himêza xwe de
Vê şevreşê

**BABÊ/3**

Gotin "miriye"
"Miriye" gotin hêstrê min
Ez beziyam şibakê, "ma gelo sekiniye dunya"
(Ez wisa fikirîm bîstekê)
Çawa dimeşin hê jî mirov
Ro çawa ronî dike hê jî
Zilamek dikene li derve
Li dûr zarokek digrî

**BABÊ/4**

Çaycî di qedehekê de çay bide min
Ku lê neketibe devê mirîkî
Kursiyekî bide min ku mirî rûneniştibe
Û masekê ku bêhna mirî jê neyê
Ez nikarim li çayxanê rûnim, wisa li derve
Ne li erd û ne li azmên, wisa li derve
Li cihkî ku ez nebhîsim dengê mirinê
Kils nikare sipî bikê siya mirî û mirinê

## NİSÊBÎN/1

Divê ez pîramîdekê ava bikim ji kevirên huznê yên ku
(min di şevên te de birrîne
Ji fir'ewnên hevdem re mezel û şahid ji mezlûmiyata
min re)
Û ji bo ku mêras bimînê nefreta ji zilmê ji dawiyan re
Divê ez bi xwîna sor tevbidim xerca wê
Û ez li dîwarên wê qisseta
Benî Îsraîlê hevdem (neqş bikim
Darên xurmê yên fir' ewnî weku darên îdamê
Û dest û piyê me yên ku çeprastkî hatine birrîn
(Ku her yek li derekê ne
Piyê me
Milê me
Serê me
Bedena me
Ku her yek li derekê ne)
Û xwîna me ku qedeh qedeh tête vexwarin
mîna şerabê)

Û bi dîtina kirasê te yê zîlletê ku tu nikarî
Pişkokê têlsincikiyê wî biqetînî û jixwe kî
Divê ez biqetînim pişkokê kirasê xwe yê teng ku (sînga min digivêşe
Û ji misreyên xwe laleyan neqş bikim rêz rêz (ji rengê xwînê
(Mîna laleyên ku me xwe j 'têlsincikan dirêj dikir û (diçinîn ji mayinistanê)
Divê ez qelema xwe binoqînim di xwîna mezlûman de
Û bi misreyê xwe yên agir û pêt bişewitînim
dezgeha zilmê )

## Jl BO HEVDEMAN/Ço

Bavêje ji destê xwe wî çoyê ku tu
Çiloyan dibirrî ji berxên xwe re pê
Pal didî ser hifza xwe dikî ser piyê xwe disekinî pê
Berxên xwe diçêrînî ji destê xwe bavêj
Ha can be navê wî ha canan be
Bavêje çoyê xwe j'destê xwe Mûsa
Dê daqurtînê werîsên sihirbazan tê bibînî
Bavêje j' destê xwe Mûsa wî çoyî
Da ku daqurtînê werîsên tankî û topî û tifingî

## HENGAMEK

Pelê teqwîmê diweşin sê-çarek liser daran
Rojeke sar î zivistanî li pişt pencereya xwe
Min li jiyanê nihêrt mîna çiyayê dûr ên bi berf
Ricifi dilê min şikestî ji hemû tiştan
Her tişt parçe parçe zêde dike xema min
Û pelê teqwîmê diweşin sê-çarek li ser daran

# ŞÎNA ZAROKÊN LI HELEBÇE HATIN QETILKIRIN

Hun wisa dilgeş û kamran in ku îdî
Tevkujiya zarokan jî nikare we xemgîn bikê
Ma ne em bûn ku me nalîna mezlûmekî
Zelzeleke cihanî qebûl dikir ji bona herkesî
Berê mirî nefesa xwe ya dawî di dan û dimirin
Li Helebçê zarok ji vê jî hatin mehrûmkirin
Dayikno we çima em nefetisandin hengama
(welidandinê
We çima em mehkûm kirin ku em bibînin vê rezaletê
Ew ku çiya nikarin rahêjin vî barî, ma çawa
Wê rahêjin milê me van hemû tabûtan bi carekê
Hîroşîma, Viyetnam, Efxanistan, Filistîn
Têr nekir xwîna zarokan Dehhakê demê
Heyf e ku em biqasî Kawa jî nehatin ku Kawa mir
Lê Dehhak hezaran Dehhakan welidand bi carekê
Bila bigrî welatê Selaheddînê binavûdengê min
Bila bigrî Qudsa Ezîz li ser vê qederê
Gelo em çawa dijîn di bin vê zîlletê de çawa
Mîna keriyek kerr, keriyek lal, keriyek kor
Bila di mejiyê me de rabê qiyamet eger wê rabê
Yan raperînek birûmet, yan bila tevkujiyek giştî biqedê)

## CÎGERXWÎN

Ey dara hejîra ku rayê xwe berdaye
Dilê latekî ji latên welatê min
Li ser çiyakî berz û bilind bi şan û şeref
Li deştê dinhêre li deşta bêbinî
Ey Cîgerxwîn ey dîkê şefeqê
Ku di dilê wî de noqiyane pençikê wî
Bi feryadên xwe cîgeran pare dike
Û sibehên ronî bangdide li welatê min

Bibînin ev axa bi navê "beyar" demxekirî
Di bin barana histêrên mezlûman de
Xortê xwe yên ku tovetov noqiyane di axê de
Mîna simbilên ku hezaran didin
Mîna gulên heftber ku hefteheft didin
Vaye ji nû ve dizê
Ey Cîgerxwîn
Ey dîkê şefeqê ku bi dengê xwe yê berz
Parçe parçe kiriye şeva tarî ya welatê min
Û pençikên wî bi xwîna cîger hinekirî
Dema ku te bang da bi dengê xwe yê xwînî
Hişyar bûn darûberê welatê min
Kevir û ax û kulîlk
Mirov û teyr û xezal
Hişyar bûn bibîn
Ey Cîgerxwîn
Ey dîkê şefeqê ku bi dengê xwe yê berz
Parçe parçe kiriye şeva tarî ya welatê min

## ÇARÎN

Mêro umrê te çûye bi teqteq û reqreqê
Tif rehmet nehesibîne, nebe weku beqê
Xelk û alem ji heyvê li halê te dinêrin
Li ber cehaleta te, meriv dike biteqê

Mêro bi vê îslama ku tu de'wa wê dikî
Tu Xwedê aciz dikî, mirovan ji rê dikî
Wellahî dînê min û dînê te, ne ji hev in
Ez li avê digerim, lê tu agir rêdikî

Dengê daholê bi te, ji dûr ve xweş tê mêro
Tu ku kerê cahil î, zirîn b'te xweş tê mêro
Cehennem ya herkesî, cennet ya te xuya ye
Cenneta ku tu têde, li min ne xweş tê mêro

Dibêjim "gul", dibêjî "lo nebêje istirî"
Dibêjim "heq", dibêjî "min çû ji hakim kirî"
Dibêjin "hemû mirov ji yek eslî hatine"
Lê wellah esl yek be jî, ez gul im, tu istirî

## RÊNAS JİYAN

### Jînenîgarî

Di 1974'an de li Qoser'a navçeya Mêrdînê ji dayik bû.Dibistana Seretayî û Navendî li heman Navçeyê xwend. Di sla 1997ê Zanîngeha Dîcleyê Beşa Perwerdahiyê qedand. Di 1992'an û 2002'an de hate girtin; piştî girtina xwe ya 2002'an ji welêt hate sirxûnkirin. Di 1999'an de pirtûka wî ya ewil *"Janya"* gava ku derket ji teref xwendevanan ve weke fênomenekê hat pejirandin. Di pirtûka xwe ya duyem *"Mexzena Xwînê"* de stîl, form, harmonî û têmayên nû cerribandin. Di havîna 2003'an de ekola hunerî-ramanî *"Çirûskîzm"* eşkere kir, weke xebatkar û matrîsê pêla teorîk-pratîk *"Çirûskîzm"ê* hîn jî xebatên wî didomin. Di 2006'an de berhema wî ya şono-trajîk a çirûskîst a bi navê *"Di Tuwaletê De"*yê weşiya. Edîtoriya Weşanên Belkî'yê dike.

**Berhem:**
Janya,weşanên Doz,1999
Mexzena Xwînê,Weşanên Belkî,2003
Di Tuwaletê de,Weşanên Belkî,2006

## HEBHİNARKÊ

Ji wê şeva bişewbê
Bêhna firîkên şewitî dihat ji çolê
Çend xarên min wenda bûne li newala waweylê
Destmêja te û janê ji hevdu naşikê
Hebhinarkê!..
Min ji te re got nexeyide ji wê çîrokê;
Wê gewriya te dil bide kêrê
Li kerbelayê
Belê delalê

Li çaraliyê çefiya min,
Diçûrise şûna şûrê şilfîtazî yê iskenderê mezin
Kulora şahmeran e egala li serê min
Ev kitana çenda ye te li xwe şikenandiye hebhinarka min
Ne sûcê te ye,
Ew mîratê kewan li me nehatin

Li çiyayê şenalê,
Komeke xenzîr teyrê tawiz ji xwe re biraştine
Perîkên wî digirîn li dewsê
Tu hogirî van perîkan bûyî
Hebhinarka delalî
Bi cizbê ketin hêsirên te yên firyalî
Li ser goleke mêşinî

Ji bo ez bi serê xwe dakim,
Ez ê dojeh bi dojeh li xweliya hestiyên te bigerrim,
Hebhinarkê; teşiya bê,
Destara berfê,
Berîvana baranê,,,

## DÊ Û LAW

Gava ku ez diçûm
Niviştek çêkiribû
Diya min ji bo min
Sê nanê firnê qewl kiribû
Ji bo ku bayê li ezmanan li min nexista

Lêvikên wê diricifîn
Çavikên wê diperpitîn

Ku ez vegeriyama
Wê sê rojan rojî bigirta
      Di ber riya xwedê de
Wê sê nanê firnê belav bikira
      Di ber riya şêx û ûcaxan de
Wê şîrê şêr ji min re bianiya
      Di şîvê êvaran de
Wê gulîsoreke por hinnekirî bixwesta
      Li gora dilê xwe
Wê ez bizewicandama

Ne sê nanê firnê belav kir diya min
Ne sê rojan rojî girt
Ne gulîsoreke por hinnekirî xwest li gora dilê xwe
Û ne jî şîrê şêr anî di şîvê êvaran de

Ve-ne-ge-ri-yam
Li wir mam

Hêviyên wê di dil de
Bûn kulmeke cîncoq
Şikest û man

Porkura diya min
Li ser dika malê
Hîn li hêviya min e
Hîn…

Wê li wir por spî kir
Min li vir jîn

# BİGİRÎ HİBRA PÊNÛSA MİN BİGİRÎ

keşfa hêmayên esîl jî
êdî ne bes e ji bo bextewariyê
spîçolkî, bêekl û eşqiya eşq
di lîwanên rêya kadizan de dixurice, dixurrife
û xwe li biyanistana digire
her spêde
ez qam dikim xwîna qeşagirtî
bigirî hibra pênûsa min, bigirî

çêja baranên çilesrîn
di devê min de
lîtav
minminîkên pola
daqûl tên li ser lêvên min ên qeşa
ji çiçikên hoste
kedî dikim janên bêterbiye

peyitand remildaran
divê dê gelek bê kuştin li kurdistanan
ka xencera xwe bîne cellad
li min bicerribîne
hezar carî
bigirî hibra pênûsa min, nagirî

kesa bengî wê bûm
di kevalan de; mercan, lal disûtîne canan
dengê mirinê ji bêdengiya min tê
aya tu li ser min distrêyî operayên malwêran?

di bin desthilatdariya împaratoriyên xezebperest de
ez nuxuriyê dîroka jinbî
bigirî hibra pênûsa min, digirî

## JANYA

xwedê û wext xelet hatiye xitimkirin
naqozên dêran kerr...
minare kin
doktrînên dekolte lixwekirî evdal...
sarincên ji baranên derengmayî, derengbarî hatibû damezirandin, bi derbeke neşterê ya dirinde şolî bûne, barûyên ji evînên nukleerî di serdebên ji krîstalên rokoko hatibûn kemilandin qîtik qîtikî bûne, ji xewnên bêxwedî xeyidîme, pekiyame û hatime janya, ji nalînên min re
vokalîstiyê bike
(ji qewmê pezkoviyan re xew heram e)

peykerekî; antîk, derizî û mîtolojîk im, nêm ji min dihere, li ezmanê hundirê min qaqlîbaz firînên kamîkazeyî li dar dixin, kovanên genimî li ber aşên êşan kêliyekê jî aş nebin, aj nabin hûr dibin û hey hûr dibin, ji alfabêtan tîpek kêm dibe gava ku dimirim, w...ey waweylê janya, kezeba min dike di devê min re derkeve ji qahra!...

çi qas evarên şînboz bihurîn û çûn ji keştiya xeyalan çirûskeke serzer peya nebû, li peravên hestên min ên hestî û çermmayî, pêxemberekî sixte di nav kirasê xwe yê gewrîboz de, bi derewan be jî dest dirêjî min nekir, ez venexwendim cemaeta xwe, ferîşteyeke fahîşe sîng venekir, maran jî ji kom û refên xwe ez aferoz dikirim,

bi qasî yezdanekî bêqûl tenê dimam, mezhebên şêx û mirîdên wê ez min diafirandin di çarmîxan de, min her çavê xwe li destmalka bixwîn a destê weronîkayê digerand, bi îskeîskeke zengarî mîna guran tim dizûrriyam, hosteyê dînîtiyê mam, goştê hov ji te ricifeke ruh divê, nêrîneke şêtiya şûran divê, ez heta qirikê binecihê tirbê,

hilnayêm janya
hilnayêm porkurê
di tirban de hilnayêm ha!!!

a li eniya te nivîsî ne qeder e, soneya serpêhatiya temenê min e, dengê min diêşe, welê bi sewteke berz û peritî min dilê xwe têr rehet nekir li qîrîniya navê te, çirreke şiîr didoşim ji hewraniyên spîboz ji bona çivîkên çavên te, xwezî janya min îmana te ya rewnaq bihewanda, xwezî berxê ji xeynî te pê ve bi tu fikaran min tahma hişê xwe xera nekira, bêxem min tu li suqulîka xwe bikira û sûk bi sûk bigeranda, di nav şaneşînên nêrgiz û nesrînan de min devê te bikira zindana zimanê xwe
lê xwedê û wext xelet hatiye xitimkirin
ez hêmayeke heyama hawaran,
di herban de nîşangeha riman
serî gok, çav xar, zikçirriyayî

fermo janya êdî tu dikarî xwe bikujî!...

## KOLLEKSİYON

Kolleksiyona 4'em, li lîsê, salên terr
Ev çirûsk, ji şewqa kêreke barûte hatiye berhevkirin,
Di tahma xwepeyitandina xortekî ya li himberî hevalên xwe û di bêhna pîrekan de ye

Lîse,
Ango taştiya emr
Ango lîstina bi kêran
Heyecana pelandina demançeyan weke hêtên qîzan
Şûna jopên girtina xwepêşandanan
Sazkirina xeyalên erotîkî li gel keçikan
Lîs e
Lêvên te, riha min cara ewil kurr dike
Pizikên min serên xwe berra ber xwe didin ji fediya te

Tu kuxika çixareya min a ewilî yî
Tu rondikvexwarina ewil a giriyê min î evînî yî
Tu lîseya emrê min î
/(li paş hewşa mektebê
Heke tu werî bin wan daran
Bi soz!
Bi vî dengê xwe yê nuh qalind bûye
Ez ê azan bidim navê te
Lîse,
Mekteba min çavên te)/...

***
Kolleksiyona 6'em, li pirêzeyekê, muxribkî
Ev çirûsk, ji çirûsîna zêrîn a komên pûşên serzer hatiye berhevkirin,
Di tahma fêrîkan û di bêhna firîkan de ye

Solên te di destê te de
Devê dawa te hilkirî
Pêxwas
Li peravên pirêzeyan tu li şeytanok û qalikên bahrê digerî
Muxribkî

Tu mihîneke xweşik î li nav pirêzeyên berriyê, dîn û şîn...
***
Kolleksiyona11'em, li ser sergoyekî, zivistanî
Ev çirûsk, ji pêtên sobeyeke ku di rojeke sar de vêketiye û yên li dora wê, ew weke quble qebûl kirine hatiye berhevkirin,
Di tahma elektrîkê û di bêhna berateyeke
Gennîbûyî ya li ser sergo de ye

Tu weke pisîkeke ku êdî bi kêrî kuştina mişkan neyê û
Di kîsekî devgirêdayî de ji alî xwediyê xwe ve hatiye avêtin li ser vî sergoyî

Ê te peyv zû li te diket
Qelbê te weke wan bahcanên li ser sergoyan pelçiqî
Û xerabe

Weke wan boçikên çixareyan hatibû vexwarin xwîna te
Û tu li serbestiya xwe mabû heyirî

Li gorî ahda te
Kê devê kîsê te vekira
Te yê weke cinnê lempê heya roja qiyametê jê re koletî bikira

Ger te bizanîbûya bê
Ne ji bo te serbest bikira, ji bo tu bixwara
Wê kûçikekî tûle devê kîsê te vekira!

Xwezî heyata te bi heyvanê aciziyê nemeyandana...
***
Kolleksiyona 17'em, li qebra qesra tenêtiyê, payizî
Ev çirûsk, ji biriqandina şîrêza li ser pelên zuqqimê
Hatiye berhevkirin,
Di tahma quzelqurtê û di bêhna kufnikê de ye

Bahr jahr
Mizgîn enderîn
Şewba hibrê ez bi şerbê xistimê
Û tenêtiya min a terorîst xwe vezelandiye
Li ser doşeka tahl a emrê min î zahferan
Rê:
Weke kêrê di bin lingên min de dihere û tê
Reng:
Kesixîn
Deng:

Bûn pûş û şewitîn di kadîna guhê min de
Ax rûyê te gundekî xerabe!

Li gastîna çavên min, kund, bi dengekî tund dixwîne
“kuro! Agir berra bejna xwe ya pênûsî bide,
Kuro! Stûna stûyê xwe bide ber dahsan, bişikîne“

Lê lê mê kalanê
Her û her şûrekî şilfîtazî mam li vê salona heyatê...
***
Kolleksiyona 18'em, li çiyayekî ji kevirên xwe xeyidî,
Piştî avêtina bombeyên kimyewî
Ev çirûsk, ji ber gulleyên ji tahtan dipekin hatiye berhevkirin,
Di tahma tahliya ecûrên narincokî
Û di bêhna gazên xerdelî de ye

“yekî” ji bo yekîtiya çiyayên çardehsalî ahd kiriye
“yek” bi cegereke bêkalan li mêraniyê sinciriye
“yekî/ê” li destên xwe gul, li çavên xwe xew û li lingên xwe deşt heram kirine
“yekî/ê” ji bo serbestiya welatekî stêrkan telaq avêtiye
“yek” dê bike newal qamekê tije xwîn bibe
“yek” dike li xwirînî erd û ezmên dabeliîne
“yek” weke çawa lawireke mak çêlika xwe bialêse
Xwîna ser çavê hevalê xwe dialêse
“yek” ji kerban keviran dikerritîne
“yek” li ser yekî/ê weke kilameke kelogirî digirî
“yek” li ser yekî/ê weke dengbêjekî zimanjêkirî dinale

Ax!” Yek” bi “yek” dimirin
Bê cabon, gorr, gul û qurnefil in
dil in...
***
Kolleksiyona 22'em, li talanê, biharî
Ev çirûsk, ji çirûsîna elektrîkê ya ku li ser laşekî diperpite hatiye berhevkirin,
Di tahma êvarên bêevîn û di bêhna baranên bêbihar de ye

Û pez nehiştin
Û rez nehiştin
Û kon nehiştin
Û mihîn jî nehiştin
Û bilûr fetisandin
Û qirikên dengbêjan kêrkirin
Û berxikên şivanan xeniqandin
Û satilên berîvanan pelixandin
Û çûn...

Belê, me baş dizanîbû,
Lê belê, wan nizanîbû ku şûrê me yê azadiyê
Her ku diçû bi êşan tûjtir dibû!...

## KAWA NEMİR

**Jînenîgarî**

Li bakûrê Kurdistanê, li bajarê li ser tixûbên Ermenistan, Nexçîvan û Îranê, li Îxdirê, di 29'ê Gulana sala 1975'an de, di maleke bêpirtûkxane de -bi devê helbestkêr- ji dayik bûye. Malbata wî bi qasî 250 sal berê ji Gevera Culemêrgê koç kiriye, desteyên vê malbatê li erdên di navbera Îxdir û Bazîdê de belav bûne, bi cî û war bûne. Bav û kalên wî di gundan de feqîtî kirine, bapîrê wî Hemîd Seydatiya İlmê Îslamê kiriye. Her wiha, xalê wî Feqî Îbrahîm mirovekî dilpak û feqiyekî naskirî bû.

Li Îxdirê piştî kutakirina dibistana seretayî û navîn, Nemir lîse li Stenbolê, di kolêjekê de xwend. Piştî du salên xwendinê li Enqereyê li Zankoya Hacettepe Beşa Ziman û Wêjeya Îngilîzî, sê salan heman beş li Stenbolê xwend. Ji bo ku fêrî Yewnaniya Kevin û Latinî bibe, di heman Zankoyê de derbasî Beşa Ziman û Wêjeya Yewnaniya Kevin bû, di vê beşê de, di sala xwe ya duduyan de, ji ber piştgiriya Kampanyaya Zimanê Kurdî ji Zankoyê hate avêtin.

Nemir,di navbera salên 1996 û 2003'yan de, di Navenda Çanda Mezopotamyayê, Şaxa Stenbolê de xebitî, li vir, ji karê pêşkêşvaniyê heya wergêrî û edîtoriyê, bi birrek karan rabû . Di navbeyna van salan de, edîtoriya kovarên wêjeyî, hunerî û çandî, *Jiyana Rewşen* û *Rewşen-Name*yê kir, bi saya van xebatên xwe

bû yek ji endamên Wêjeya Kurdî yên nifşê bi salên 90'î re derketî mexderê.

Serbûriya Kawa Nemir ya nivîsandinê 17 sal berê bi zimanê tirkî, bi nivîsandina helbestan dest pê kir; lêbelê bi destpêka salên 90'î re, bi peydabûna berhemine zimanê kurdî û avabûna sazî û dezgehên kurdan re zû dev ji tirkî berda; piştî asîmîlebûneke gellekî kûr, piştî zarokatiya xwe bi demeke dirêj, li zimanê dêya xwe vegeriya; ji 1993'an û bi vir de ye jî, berhemên xwe yên wêjeyî bi tenê bi kurmancî dinivîse.

Piştî ku dev ji xebatên xwe yên li Navenda Çanda Mezopotamyayê berda, Nemir,di dawiya sala 2003'yan de, weşanxaneya bi navê *Bajar* ava kir, di navbeyna sal û nîvekê de çardeh pirtûk (ji wan danzdeh bi kurmancî, dudu bi tirkî) çap kir, lê ji ber tengasiyên aborî û gelek sedemên civakî yên din, di dawiya 2006'an de deriyê vê weşanxaneyê girt.

Heya niha di gelek kovar û rojnameyan de helbest, werger, bend û nivîsên Nemir belav bûne, ku ji wan hinek ev in: *Jiyana Rewşen*, *Rewşen-Name*, *Nûdem*, *Nûbihar*, *Avaşîn*, *Huner*, *Azadiya Welat*, *Nûza*, *Gulistan*, *Kevan*, *Tîroj*, Kovara *W*, *Özgür Gündem*, *Yaratim*, *Notos*…

Nemir, di cimeatan de, carinan ji helbestkariya xwe zêdetir, bi wergêriya xwe dertêpêş.Wî heya niha ji Wêjeyên Îrlandî, Îngilîzî û Emerîkan berhemine William Butler Yeats, Walt Whitman, T. S. Eliot, Ezra Pound, T. E. Hulme, Langston Hughes, Ted Hughes,

Slyvia Plath, Emily Dickinson, Sara Teasdale, Edgar Allan Poe, Robert Frost, Carl Sandburg, William Shakespeare, Oscar Wilde, Ernest Hemingway, Edward Thomas, Seamus Heaney, H. D., Gertrude Stein, Amy Lowell, Marianne Moore, Anne Sexton, Wallace Stevens, William Carlos Williams, Alexander Pope, Basil Bunting, Stephen Crane, John Milton, Lord Byron, John Keats, Percy Bysshe Shelley, Stevie Smith, Thomas Hardy, William Wordsworth, William Blake û gellek helbestkar û nivîskarên din wergerandiye kurmancî, ji van hinek wekî pirtûk hatine çapkirin.

Kawa Nemir zewicî ye, bi navê Siyabend Arî kurekî wî heye.

**Berhem:**

*Selpakfiroş*, Weşanxaneya Elma,2003

*Bîşenga Deşta Dûr* Weşanxaneya Lîs,2006

Werger:

Gilgamêş û Çend Mythosên Din,Weşanên Jiyana Rewşen,2002

Mirin Niqutî dilê Firkevanekî İrlandî,William Butler,Weşanên Sî,2003

Welatekî Bejî û Deh Koroyên 'The Rockê',T.S.Eliot,2004

Pêşengno!Lo Pêşengno!,Walt Whitman,Weşanxaneya Bajar,2004

## SERKÎSOF

*Bo kalikê min Mihemedê Resûl*

li deştên dipdirêj hespên çargavî
difnên wan hilma tivingên Kurmancî
qerpûzên vala, bêhnefişk misk û emberî
ji kîjan çaxê dibezin, dibezine kîjan dastanê
Derwêş lê hiştin, bi xwînê şûştin herasa meydanê
li deştên dipdirêj dîroka çargavî
li nava du tiliyên min Cixareya Biharê

dikişînim, wezê nemirim, sozên min hene hê
yek, çiya dikevin bextê min
yek jî, katjimêra Serkîsof a kalikê min
dest hişkehişk li bijiyên kuriyên bayî
çawa jî şevekê ji çiyayên Pinyanişî rabûye
hogiro, lo zar û zimanê mino
bi bêrîka êlegê min de ye mîrata te hê
neviyên te welatekî qerisî li serên xetan
serma dikin, min hembêz bikin kuliyên berfa zarokatiyê

zivistan'im çîrokên min di binê berfê de
çil sal e dizivire, dizivire Serkîsof

## Lİ BER PENCEREYÊN SEDSALAN

Diedilim di çermên maran de, ser hev pencereyan vedikim.
Stranek nîn im, dengek nîn im, velerizînek im!
Ma dikarim derziya xwe di lêva dinyayê rakim?
Bila bêdengiya birêkxistî be ala girseyên dirrinde.
Divê qerase bêne bercestekirin dengên kemanên virnî.

Dikişe, dixuşe qewmê belekiyan. Ji wan im.

Sêwîtî çi be, êdî dinya bi xwe nebe?
Kil nekim destmala govenda janan, xwe nemijim,
sîmetriyê nederizînim?
Na, divê qerase bêne bercestekirin sînfoniyên kulên
kur, ku me diderizînin.

Dibe deryaçeyeke aram qewmê belekiyan. Ji xwe re perav im.

Zivir zivir dizivirin katjimêrên kalên çavşîn.
Ji hemû bav û kalên min ma mêrgeke nemir î hêşîn,
destên me li wê gerdûnê digihîjin hev demeke çolistan,
li ber pencereyên ku vedibin bi ser sedsalan.

Bêhna pûngên nemir tê ji berava kevnedemeke baranî.
Stranek nîn im, dengek nîn im, velerizînek im!

## HESPÊ Dİ ODEYÊ DE

Hewş bêdeng. Dem û dê derbas dibe tê re bêna.
Dar e esmanê zarokê ku sîlebendên xwe vedijenîne.
Avreşîn dikin du dest, bêdengiya şil, welatê dema qerisî.
Ez im, tîtikên min in şer çi ye nizanin, yek jî Xwedê.
Xwedê, ewî ku dimire li çiyê, dê dilovanî didê.
Lêbelê çiqlên dara qeysiyê ne milên min, yek jî Hayastan.
Min hîç keşeyên ku şevê li xwe dikin nebû.
Û wê kêliya ku kesî ji min nepirsî, min hesp afirandin.
Bijiyên wan bakurî, bayî, min ew ji çiyayekî dûr firandin.
Kalikê min, kalikê hemû kesî, rîhanan dadiweşîne.
Û hîç namire, hîç namirim, nabim gûlik.

Wiha wiha fêrî tenanetê dibim, di xwe de kedî dikim.
Ezra, bazirganê şaş, mirovê qenc î berevajî, kokel.
Hewş bêdeng. Ez im, hespekî sêw, dîsa ez im, ez hesp im.
Radibim dadikevim kuçeya seranser erxewan î binefş.
Têm *Lila Downs* didim ser, ji xwe peyayî diya dilovan dibim.

## GERA KESÊ ZANA

Dem newala zinarên gewr e, li ser sêrî ewr e
Dibînim berfîna serî radike'j belekiya gewre
Ewa ku demekê gula sor di oxirê de hilbû jor
Wê bi xamatiya tor şa nebe, stû ranebe berjor

## DÎSA RAPERÎN BO B'YÊ

Ez û tu di daristaneke esmanî de kîp dibin, ez û tu:
Şoreşa me ya gulên şêstper li ser piştê bila...

Baweriyê bi Xwedê tînim, kêliya ku li te binihêrim:
Pûngên li ber avên pirnisî difûrin...

Rûyê erdê peyvên xwe yên şîr fêrî me dike:
Birûsk û tavanên meymeskî, gurregurra lêvên me...

Wer dizanim, ez ê berbangeke zereşîn hişyar nebim:
Bila kuçeyên Ameda pîr bimînin di nava me de...

Pîlaqeke ji salên 60'î diçîzîne, dîlana cinên bajêr:
Dîntiyeke ji peyvên nisilî mezin dikim bo te, bo te...

Meyzê, destên min ên bedew yên te ne, yên te ne:
*Katjimêra Mezin** li hêviya xaniyê te yê dêrîn e...

Ez bo janeke qerase ji dayik bûm li ber sîtavka daran:
Bîşenga min a sêwî bejn avêt, bû rêwî...

Diçim mêtiya te bimijim, ev zanyariya zozanan e:
Dêrî veke, ji keviran hinneya porê te kişand min...

*"Vira Radyoya Yêrêvanê ye!"*, vira êvara dargerînkan:
Çendî şên in şaneşînên hênik, şox û şeng çendî...

Rûyê erdê rûyê min e, sûretê min di cemala te de:
Avên ku dikişin cem karxezalan radiperînim...

## LAL LALEŞ

### Jînenîgarî

Di sala 1975an de li Qosera Mêrdînê çêbû. Dibistana seretayî, navîn û lîseyê li Qoserê xwend. Li Amedê Zanîngeha Dîjleyê, Fakulteya Perwerdehiyê, Beşa Dîrokê qedand. Di navbera salên 1993-2006'an de li şanoyên bi navên Tiyatro Anadolu/Teatreya Anadolu, İmgesel Düşler Tiyatrosu û Teatre Orient de wekî dramatug, rejisor û gerînendeyê giştî yê hunerê xebitî. Lêyîstika bi navê “Dildojeh e” ku babeta wê jiyana Ahmed Arif bû ya ji hêla Onur Cebe ve hatibû nivîsandin, da leyîstandin. Herî dawî rejisoriya lîstika “Çîrokên Diyarbekirê” ku deqa wê ji hêla Şeyhmus Diken ve hatibû nivîsandin, kir. Niha li Weşanên Lîs wekî gerînendeyê weşanê xebatên xwe didomîne.

**Berhem** Berbejna Rê, Helbest,Wş. Belkî, 2003
**Wergerên ji tirkî:**
Barûdî, Kuçuk İskender (Helbestên Bijarte)Pirtûkxaneya Piya,2003Gul e Rojhilata Rûyê Te,Helbest, Wş. Lîs, 2005
Bêbaran,A.Hicri İzgören ( Li gel Yaqob Tilermenî, Helbest, Wş.Lîs, 2005

## LEM YEKUN QE NEBÛ Ll BÛNEWERLYÊ BİHUKUME

Gula xeyb meya tarî nivîsî navê hesretê
Bi navê bûneweriya teyrxaneya sosretê.
Gelo kes navê birîna me jî nanivîsîne?
Xeftan lewitî! Xeftan lewitî!
Azadî xurifi! Azadî belweşîn el
Dil qutufi! Dil bencxwarin e!
Gelo kevokeke teyrxaneyê para me nîn e?
Destûr ji dijmin tê xwestin.
Ji bo çûna ser serê miriyê îremî
Gelo me ebadên bende ruh azadî û evînek nîn e?

# ŞİKAR

**İ**

keştiya mirûztirş, reş reşbelek bi dûr ket
Ji kendava merseleyan
Bi dûr ket zerya ji geremola bi mij û dûman
Kazîna bayê babirkên bawî
Qet îcazet neda medresa ulmê lêvan nebû melayê duwazde ulman
Çav li girava huzna perîzadeyan
Xeliya rûçalên doza zeryaya hundirîn, qahwa tahl
Xitim dike gewriya bibirîn lavlavkên mor ên bi bext ên bi rext
Dirêjî dawên feqiyan dibin li rukala avçiruskan
Dilerizin hucreyên bihevşabûnê
Bi qolincên noqbûna gulenîsanên sosret
Temisî!
Fanosa şevreşa zeryaya derewîn, temisî!
Serperî û zeryavan di huznên avgonê de fetisî heyfû xebînet e!
Wawîkan wesîqeyên eşqa xweşiyarxwarin li kelat
Û geliyan
Ey yara hebirmana sindoqa eşqê
Qaçaxa salnameya reşêşkê
Fanosa min tu li ku yî?
Were em tiliya xwe di qula evînê de rakin

**İ İ**

kujerê cûnkewê û êşên min dihatin ricimandin
Te yê jî riya xwe bi dewsa kuştina cûnkewê bixista

Te yê jî ji paxila xwe ya aram
Kevirek bavêta bexçê gunehan
Te melkeb da ser kula gulavîn
Te da dû teyrê zemanê ber ava şîn
Tu çû!

**İ** **İ**

meytê cûnkewê ma li hinda gola xezalên xezebê
Nebûn xwedîfêriz li royarên tîrmehan
Bêhna kilamên kizûrî bû sirûda êşan, bû xofgeh
"wele yabo ez meyt im, bêxwedî me
Wele yabo gelê min ji ber bêhna min bi fedî ye ... "
Tu çû bi lokê kêş!
Min jî kevirin avêtin şûna cesêt bi cesaret
Yek bo min, yek bo te, yek bo cûnkewê, yek bo ....
Dergûşa melkemot tije kevir e, a kujêr tije qetl e.
Eyarê te tije ka, ê min tije ta ye ji ber çûna te ya xeter

Tu çû bi lokê kêş warê çîlekêş.

Ey yara berbuya daweta cinên girêbîrê beybûna newala nêçîrê

Çavşîrikê tu li ku yî?
Were em xweliya mirinê bi serê xwe dakin.

**İİİ**

Arûzeyên qebhetpêdehatî
Bi dû çûyîna te re xaxa li hev dikin
Xewnên xewa alûleya evîna te namûsa hev dibin

pêncperan
Hechecîkên nuh ji hecêhatî
Bi peyva "ev çi gosilmet hat serê me" difişirin
Nîjdevan beriya bi dû te bikevin dimirin
Lêvên tifinga mohrkirî tu fermana naxwînin
Ey yara remza îlahî ya herî aldar
Sîng û berê zinarên sersar
Têkçûyîna tevzînoka sawdar
Şikara min tu li ku yî?
Were em lingên xwe di avê de dakin

## KLRÎV Û KUFRA SERABÊ

Ji ber kufrê şerabê vedixwin bi nikulê hibrê
Kirasgewr
Hûn ji riya heyatê
Ji sûretên dergehê pirmifte hez bikin
Bixemilînin daristan û şevan bi çirayên şad
Bireqisin!
Ava bikin qesran bi berên qebristanan
Berwarî roja li odeya we hiltê bibin
Ku zarokan dev avêt tawis
Êrîşkaran xêzika filehan gerand li dora laleşê
Hûn hemû tawisparêz
Bi kerba kerbelaya salê
Şivê rakin li tiribêlka kirîbatiyê, li rima rojhilat
Di rojên giran de koç bikin
Zerîfexaneyên çiyayên şengalê
Sindoqa merhemetê vekin,
Şahid rakin zumrudên ariya êr
Minare bi ser serê me de xera bû!
Kirasgewr ji bîr nakin,
Bi tenê efû dikin! Birayên rojhilat!
Kirasgewr bi deq û dilqê xwe dikin
Kirasgewr bi kefenê kevokên ber kêra we dikin
Kirasgewr bi ava ku
Agirê dilê tifika rojhilat ditefîne dikin

Kirasgewr bi çerxa ku eşqa dilê tawis dihilîne dikin
Dêr bi ser serê me de xera bû...
Kirasgewr ji bîr nakin bi tenê efû dikin! Birayên rojava!
Evîndar,
Namînin li ber deriyê kewnê
Mifteya herî bi hibr e zimanê şêrê çekdar

## KELMUZON

Kulmeke ax ji çavên vekirî re welat
Guleke azad ji dilên girtî re mifte
Ne zêde ye ne zêde... Hedla
Ka qedera gêrgêrîkê, girêza devê pilo
Qe nebû xewlebûna xwe
Beriya tu dûrtir bikevî ji min re bike qûç
Li awêneyên çola nepen
Rewrewk bi pehîna bi kela sozan dikeve
Dara xurmê nabe talde
Ji xeyalên berdûşê hundirê zulma min re.

Taseke şerbet j i dil birijîne dilê bikul
Sî bi şeytanoka re diqîre, find tund dibişire ji dil
Digeşe, dicoşe, dişewite kêlî
Dikumuşe bedena kirasên keskesor
Rêşiyên hermelên hudûdên xesteyar
Binkirasê xilmaşîbûyînê
Bi kund re difirin
Rex bêyomiya bikelmuzon, nava nifirên rom
Buxur, şûr û kûrekûr
Wext, serwext û kom û kuflet
Hêsîr dikeve destê derfetên dûnde
Ez şerûd im çiyayên xwe vedidizim ji mehkumtiya te
Tu li mehkemeyên şeydayan
Dîltiya axê mehkumî mirinê dikî

## DÎWARÊ XERBÊ

1- Heft kulên kemînê, heft milên şamdanka diltepînê
Bi ser serê qûça gura ve dixwînin destana xwînê
Dixurice stêrkên şeş perîk ser serê hêrsimên evînê.
2- tizbiya me qetiya li şahdamara rojhilatê ...
3-zêmarên evîna mûsa dinehwirînin mirî
Axx! Qebûl nake tu miriyan xaka bedewî
Bigerînin wan sûk bi sûk hukmê nîvê şevê bi dizî.
4- hibr û hûring bila kêm nebe ji ser serê jihevhezkirinê ...
5- şehweta Ester rizand quflika dergeha hêsîriyê
Rakir xêliya fetha heft welatê ji werza evînê
Xuyabû yên xuyanedibûn ji qewlê şevînê
6- konê me li çolê ma, heft rojên me jî ..
7- dîrok, cahda mahr û jinê ye
Pela hejîrê, stareya xwîna ku rijiyaye erdê ye
Coşa septê, nalîna haham û bîşengê ye
8- neh mûcîzeyên mûsa hebin, hezar û şevek fenê firewn hene ...
9-diperpite dilê mewîjok li ser ruhê jaleya çiyê
Li qibleya axirzemanê ji sûretê mêr diwelide şeytan
Herdu çav, dîjle û ferat diherikin dûr û sebat
10- keşfa rastiyê dikuje feqîriya eşqê...

## T(ERKA) EŞQÊ

Dîmena erka eşqê li tebeqeya eşqê ya yekemîn
Awêneya dengê şoreşê li tebeqeya eşqê ya duyemîn
Pelandina lêvan, êvaran, mayînên li bêwaran
Li tebeqeya eşqê ya sêyemîn
Tahma gulê ey hawara min a pir bikulê
Li tebeqeya eşqê ya çaremîn
Bêhna rihana hêwana pêjnê, dilsozî
Li tebeqeya pêncemîn
MA.Û.MA
Berik nagirin tumên xemûbên çolbeyarên rojhilat
Terşên feylesofan bi kalîn dikevin
Li dirêjahiya gola Hezarê
Devê min dikeve hev li ber bedewbûna te lê lê yar
Qidûmê min dişikê ku tu tune bî lî vî warî lêlê xezal
Hebûna min
Di nava tunebûna çemçirayê çiyê de ye delal
Nazenînê, lêvxayinê, şevşêrînê
Mahkûmê birînên me li mehkemeyan
Eşqa te dikare welatekî mehkûm şîr bide
Tu dûmana dilê xwe bigihîjînî erşê xwedê
Bila bi vagon bin,
Bila bi dû welatê eşqê kevin keçên dinyê
Tu hela hilma xwe bi şiva tirênê bikî ji dînîtiya janê re
Lema rezê evînên, şemamoka bîstanê semayê
Mahkumê birînê me li mehkemeyan
Bi cihenema tehma devê te kirî
Zilindar,

Gul û êvar
Qirpikên te diteqin di nava çavên eşqê de
Weke devançeya çardehderb
Kewa ku nêzîkayî kiriye li kêmînê
Mahkûmê birînên me li mehkemeyan
Giyanê te li paş deriyê dûbask
Bi çarpiya digere li erdnigariya tunebûnê
Derdeserî û stuxwarî
Her koncai di destê te de dibe sarincên zexma keleha
Hezaz, hezkirina me ya cergebaz
Her gir di destê te de dibe serhildanên sê serî
Fedihandin, hetîketî kê dît?
Hinara zivistanê, mayendeya sebrê
Mahkûmê birînên me li mehkemeyan
Çavên xwe derxîne, biavêje cehenemê
Şûna wan mekteba eşqê vegirîne
Bila zarokên bêhawe li bexçeyê wê
Nîvro bazdin ser machbeht
Rayê bike kul û bi dile xwe de biteqîne
Nên simbilên çavnebariya te hene
Hine bike destê xwe û biskên heftrinda
Ez ê bêfedî bêjim bi togekê re zewicî me
Psîka min a helalcan
Kumê birînên me li mehkemeyan
Ez erjengiya şêwrê me sergerden û gêjê bêwextiyê me
Herdu guhên xwe dikim keştiyên serxweş
Beradidim behra evînê dimînim li zemînê
Evîndarên eşqê bi keştiyên şerqê
Ji evîndarên behrê re
Sûretê lûtkeyên evînê dişînin

Sûretê stûxwarên xûypakiyê dişînin
Keştiya nûh hew di wechê te de binavî nabe
Erê tu yî lûtke,
Xûypakî hunera ebrûyê wechê te ye
Defa dilê min erbaneya qesîda te ye
Mahkûmê birînên me li mehkemeya

# ÎRFAN AMÎDA

## JÎNENÎGARÎ

Di 20'ê sermawêza 1968 an de li gundê Qesrê ya bi mêrdinê ve girêdayî ye hatiye dinyayê. Dibistana seretayî li gund diqedîne, bo xwendina navîn diçe Qoserê û paşê jî Dirbêsiyê ya bi Qoserê ve girêdayî. Amîda Zanîngeha Dîjleyê Fakulteya Perwerdehiyê Beşa Mamostetiya Dîrokê di sala 1990'î de diqedîne.Bi qasî 2 salan li Stembolê di Navenda Çanda Mezopatamya de li ser folklora Kurdî dixebite. Amîda li Wanê dest bi mamostetiyê dike. Piştî du salên li Wanê, tayîna wî dertê Mêrdînê. Li vî bajarî di ber karê mamostetiyê re bi qasî du salan Serokatiya Sendîqeya Egitim-Sen'ê dike.

Amîda ji bilî helbestê bi gotarên cur be cur, amedekirina dosya/feylên derbarê helbestkarî/nivîskariya Nivîskarên Kurd de jî beşdarî qada wêjeyê dibe.

Îrfan Amîda li Mêrdîne dijî.

**Berhem:**

Dîmenên Derizî, Weşanên sî,2002

Nameyên Nabersivin, Weşanên Aram,2003

Şopa Neşuştî, Weşanên Lîs,2006

## DÎMENÊN DERİZÎ

Bi peşkeke barana werza li ber çûnê tagirtî û lerzok, buxa
paca min te dibişire vêga narîn û şikestok. Û çavên min diqefile li bişirîna zerika reş, xweliya min a li agirê xwe digere ji bo dêrana ber bayê êvariya xela dîtina te di tewe.
Firk diwênim li algûşkên xwe, tiliyên fitîla çirên sifir.
Newêrim derkevim derve.
Li esmên nexşeyeke guncanî. Dilkêşiyeke hingurîn.
Di hunkûfê spêleya takrihaniya guliyên te de hêlaniye çirgîtiya perwazên pelçemokên pelepoş im.
Şevbihêrka çivîkan dibilîne nîvcomayîna çêra peravên paxila te. Li cûnitiya şêlû, şarokeriya şewareya şîlanên gulgeşta sîngê te dikin, bîranînên di kalanê bê de tewirîne.
Zehara çirîsîna niqrîskên kelegiriya kevajkêr, di kemînên te yên bi dahfikiya çavên te sazbûyî de basko dibe.
Û di kodika mêrxasiyê de ko dibe mêranî ...

Esmer dizivirin ser şûva felcî. Sikratên bejî di xelekên dix
ana ji
razana paşila te difûriya de, çarpî bi çarpî. Û reş dixeniqe bi
dastana evînê ya ji neya Rustem HESEN xunavî diherikî.

Mayende dimeye bêhna xemrî li malzaroka tariya
çîrvîrî.

Newêrim derkevim derve.
Siya şewlî stewr şikiyaye ji ber xewna mijangên
mûçekêr û
nepenên nepişî çilkiyane şaneyên bêkêr. Di bêrîka
qutikê
zeyên malkambaxiya min de, kifnik girtine qinên
giliyên
bêxêr. Û kevzî ye zayîna keviyên zayok, li rûkewiya
rapelûşkên dekzaniya reşika razayî. Li çenga çilkên
çivîkên
çelînî dişitlîne bizrê riziyayî.

Li hundir koçer im koçêr im xwe diçêrim. Newêrim
Ku derkevim di rehleya dergûşa bêdoş de, dê
xwînêriya
pirtûkên te yên bêpeyam bikim. Di merzên zeviyên
te yên
kilkirî de, wê bitefirin şevçiraxên şengîtiya şabûna
şermok.
Bi tûka nivîşkê kila kulên kurmî. Xurîniya tisîbûna
newaya
xalxalokên li ber perên reşçemiya şevîniya te
distirênin
dişikênim.

Û li ser sêwîbûna rûbarên kêferatî bê xwe diseridim.
Xortaniya viritî di kulik de bi çelê fal ketiye. Û

xaçerêkên
çîrokên xwe bi ferşikên xizaniya tirsdêr a
zimanşikestina ji
ber gefxwariniya sotîner, resîf dikim.

Şikarteyên min ên geşta parsa sala berfa sor, derî bi
derî yên
taxên te bi dahnûyî belav dibe: ji xêra diranderxistina
derdên derz li deriyên min xistine û şor diçerizînin
rehên
min rewrewkên revok ên rê li ber rawestîna
perestîşkirina
min digirin a li peristgeha bê min pişka min lê ketiye.

Kêliyên wêrek li nêrekên şaxên dugulî yên şîngulî
dixeyirin.
Dema li ber çavîka tifika li binê dara sind. Destarê
hêra
bêhna te. Dineqirînim. Û rojiya rojên rênêrînê di
dawa
heyva remikî de ya mişaxa mîrata te ya gezokî lê
raxistî ye
kitim dibin.

Di kulabeyeke kulêmekî de, bi şeva pengavî re îşev
bi
pirikeke parsekî girêdayî me.
Û di kêliya sînorê xwekuştineke sêwî re binxet
dibim.

## ÇÎROKA ŞEVÊ

Tu bê ...
Ez ê dengekî bilîlînim li bê
Û ji te re vehêjim çîroka şevê
Lê neyê!
Tu bê ...
Ez ê li helbestên xwe bêm xezebê ...

Çilê çûna te qediya ...
Çengek şewla şikestî. Li şevên şîrkuştî. Li binê baskên çil
çivîkên çîqcûn, bi çilê çûna te dikevin û çil gêrikên firok, li
çilkanîkan, ji rojiya çil rojî bi xwîna binçengan diftirin.
Kewn dikewin û pîrhevokên min dibin kew li algûşkên şevan, şev diheyirin.

Û bajar dibe epîgrafek di çîroka şevê de. Helhestî...
Di tu şevan de hilnayêm êdî
Ez nîşeyeke li binê helbesta bişirîna te derizî...
Dixana cixareya min li dilopên dora piyala şerabê direqisin.
Û dem di kezeba piyalê de sor dixeniqe. Bi xweliya agirê ji
dil dirivîne diqelişe esmanê devê min. Her qelşek hi qasî
giraniya peyvên ku nehatibûn gotin, xwe bi xwê

diguvêşe.
Dema ku bi awirekî xizan û poşmanbûyî dibim mêvanê bejn û bala xeyalên ji xiyala min dernakevin.
Û bi mircan û morîkên zarokî xwe dadilqînin, ji nîvê şevê û pêş de
bîranîn. Bi stûna qesra di dilê derizî de. Dibe xiramet di stûyê min de şeva serxweş û lal. Û peykereke dixanî ku ji bişirîneke qurifî û keserîn maye.

Şevan. Bajaran diafirînim ji stêrkan. Mişt peykerên te, li her quncikî. Û yek bi yek ez ên xwe li gewrîboziyên wan dikim şa'n.
Li qevda lingên te tiliyên min dibin xirxal.
Û bi çîrçîrokên her tu tê de yî, dixewînim qurixa rûyê te lê wênandî.
Ji bilî te, bê tirs, bi lêvên ji tîna te terikî û bizimanê sawgirtî, stranên ji xwêdanê fetisî dibilînim, ji her têlên porê te yê ebbara vî bajarî. Ku her min ên min li bin
qerimî. Û her stêrk dibin tu û dibarin hina hina wekî hebên berfa serhedî.

Dizanim ku negirim
hilolîkên payîzxêrkî
bi mijangên xwe yên ewravî
tê min bidî girtin.

Şevan, diya min li pêşiya miriyên min nimêj dike, du rik'et ji bo def'a nifirên qismet girtinê. Xwişka min gurçika guran

û sonda lîlîna heft dengan dixwe ku stewriya heft tebeqên
esmên biqelêşe, hê jî bi êş e, diêşe rebenê û bi baskên
pelçemokan sîlûetên te diparzinînin çavên wê yên hingivîn,
lê qet li hev nayê fala qereçiyê. Kundê li ser dara tûyê
bi tundî rûdinê.

Û ji dêvla min dest bi girî dikin çirçirkên hewşê.

Dizanim ku negirîm ez
Bi hêsirên gincirî
Wê birizin bîbikên kizirî
Tê min bi girî vekî.

Şevan, şivanê keriyê pîrhevokan, nêçîrvanê şopên te me, li
van deran. Di kulavê xwe de kurmî, digel şîretên pîrhevokên
bertîlkirî. Paşîva min beytikên ji sîngê te şîrvekirî. Û li nava
deviyên daristanên derewîn. Li benda şîva êvara înê ne mar
û marmarakên kemînên xewlekirî, ez li ya pêjna te ...
Bizot be jî ger min bisoje.

Bêhna te bila bi hingura şevê be û bila Helepçeya te bim,
min bişewitîne tevî pîrhevokên min, kur bike dûndê
diyê di dawê de. Qet nebe destê xwe di kevirê...

rohilatî yê gorê bide
ku dilê xwe li tîna te hênik bikim û dû re, bi pêçiyên darînî
bidêre porê xwişk û diya min, ber destê êvarê. Û tu jî dengekî bilîlîn li bê ... Lê tu nayê.

Dizanim ku nerim
Dil nexedirînim
Wê xela li min rabe. Tê bibî
Stêrkên şeva min
Ez ê bê bajar bimînim.

## EWRAVÎ

Tu li paceya min diketî
Reşêşkin
Ji kulika ewrên fedîkar bipekiya
Di esreke tahmmiz de
Xwezî di ber de mayî
Ji deman bêrî
Û min dîsa kat diçand
Çavên te
Yên ewravî
Li binê siya mêweke rez ên
Ji zû de nehatiye merdan
Û rê li ber girtî
Gunehkar
Sêwî
Bûn
Kilamên huzam
Dibûn par
Ku ji ber hênikbûna
Xusara li pelê tûyê ketiyê
Xwe vediziya kela dil
Axewar
Mikur bihatana
Hêmayên yek bi yek mirar çûne
Bi destpelkê
Li nîvrojeke dii jê xeliyayî
Û ferikî

## HECHECÎK EZ Û ÇAVÊN TE

Hechecîk biziviriyana ez diçûm
nedigihîştim pariyek awirên xwe
di avdonka mijankên te de biqijilînim

te radimûsim
û diçûm

hêlînên qirşikên wan keskînî
çiziyeke bizdandî

û bêhna kizirkên keserên te
li pey min

li peyvên şewibî diawiqîm.
Ku diçûm
di çîrokên çelînî de çavên te disebiqîn.

## TALDEYA LEWITÎ

Di bajarekî ku meytê wî dijîn de me
Bişirîna sîlueteke xayîs
Diniqute hizna te ya kevnbûyî
qîrînên ku berî seridînê şikestine
dilivin di malzaroka Şalayê de
Û ji tîna endekoyan vedigere êvar
qurnefîlek kirî xwe bikuje
Ji porê te
Kengî bixwaze diweşe di kolaneke kifnikî de
Evîneke pandomîmî bêhn dike
Tên li hizna dengê te dilikumin çavên min
Zarok dixilmişin
Bi meytê min ê li metalan metelmayî re
di taldeyeke mazûvan de
Ji hîvê dihêwişînim kilaman
li kulekên hêwî
Şevên dûr
Û çêja hevokên kevzgirtî
Loma tên bîra min awirên te yên fediyok
û çeqelîkên naşî

Siya wêneyekî dihizire êvar
bi rênerîniyê
tebax dadigerin taxên xeydok
hê nû bi talanan dihisin zarok

baranên behetî, taldeyên lewotî, rengên weldizne
gulava li mijgulên te ket, û hêsrên te

û sibat diqurifin ji qiraxa çavên te

ji cihê ku hêsirên te lê ketin
dirivine agir
zenga zimanê zemên û ferhenga barûte
tu kîjan çiyayî bîpelîne sikrat
kîjan bajarî bipelîne berate
di xefkên xeyalên xurufî de
çiziyeke çiyayî li bîbikên hechecîkan dixewire

tê û awirên te dinikilîne meytê min

## TEYEMÛM

Di nava min de zarokekî ji min xeyidî
Di dilê min de tu'yeke ji xwedê xeyidî
Dihefidînim
Eskîzên biwêjên ji ferhenga min ketibûn
Ji xwedayan re hiştim lama
Lama Mîna yê li Mensûriyê direcimînim
Adem çerixî li piziyê
Hestiyên berateyê dikevêjin
Lehengên av di gunikên wan de geriyayî
Bi nihîtan teyemûm dikin
Rustemên nizanim kê .. !
Li binê Sîpanê Xelatê poşman dibe Xecê
Behlûl im
Çi fêhm dikim ji xwînê
Poşman im
Westiyayî me
Ji avakirina Cemayê têm
Avis im
Sed û heştê mehî me
Dikim dîsa ber biavêm.

# LÊBORÎNXWESTINÊN DERENGMAYÎ

**1**

Min tu
Di xêzka fila
Ya lîstikên li ser bênderan ji bîr kir
Bo pîrebokên pisîkî
Yên çavdîndoq nêrînên te ji min nedizin
min guhê xwe digirt
Ji çîrçîrokên pîrika xwe re
li şevên ku em
Hê beşdarî şevbihêrkan nebûbûn
hê wê demê
Ji ber bê
Darikê brûskê
Bi min vedikir diya min
Hê wê demê
awirên min
Ji dêvla çavên te
Hînî vexwarina şerabê
û reva ji malê nebûbû

bibexşîn
Û min neêşîn
Bihêle ku bi mistek hesreta te
Dest bi xwekuştineke fedîkar bikim

**İİ**
li lêvên te
Şitlên hebûna xwe min çand
û li ber siya
Maçîkirinên te yên xewlekirî
xewirîn êvarên hesretkêş
Di zivinga dil de
Û ji jiyanên ku
Ji keviyên wan vegeriyabûm re jî
min helbest nivîsand
Bibexşîn
min neêşîn
Bihêle ku di rêzikeke piştî bîst salan de
dest bi xwekuştineke derengmayî bikim

**İİİ**
xortaniya min
Li awireke te ya dilbijok seridî
Di şoreşeke hestkesêx de ramûsan
li bin çengan veşirî

bibexşîn min neêşîn
Bihêle ku di mêraniya mirî de
Dest bi ristina kindireke ji xwêdanê bikim

**İV**
Bişirînên esmer bî man
Û di paxila te de tîna min
ger baran bibare
Dê ne li vir bim

bibexşîn min neêşîn
Bihêle ku di ewrên cûn de
Dest bi xwefetisandineke xeşîm bikim

**V**
Hê sênga min
Di şeva havîna binêm de ye
û cemidî ye
Rondika te ya şîn
Bibexşîn min neêşîn
Bihêle ku bi şeveke stembar re
biweşim ji payizeke bişîn

**Vİ**
te ez
Di êşa hişê xwe yî hilweşiyayî de
kuştim
Û li şeveke
Ku li teniştа kulên te xilmaşbûyî
hiştim
Hê haş nebûne
Murxên di şevistana min de
ketibûn xefkên peyvên te
yên ku hîv çewisandibûn
Ji nû ve birîn bûn stêrkên şewqagir

êdî di êşa şevên maşînbûyî de bi êş im
Û xirameta xwêdana weldizne me
Di stûyê peyvên hêwişandî de
bibexşîn

Û min neêşîn
bihêle
Ku di xwêdaneke xilmaşî de ji fediyê bifetisim

**VII**
qîrîna bêdengiya te
Di zengeloka min de fetisî
Firidî ser şevên min ên ku te dihizirîm
nêrînên te yên bi hizn
Kulên xwe tev dan bîranînan
û bi surê ketin pelçemok
Di hêlînên xwe de
Min ji bîr kirin çîrokên bi sond
Te hinarkên xwe spartbuxa awirên paceyê
hîv rûmêşinîka te hizirî
Beyanî ji bîbikên hizra şevê bişirî
Û tu ji stêrkên ku li paş ewran veşartîbûn nizilî
Bibexşîn
Min bi doşanîtî stend çavên te
bê te
Ku şewlê bidoşim jê
bo şevê
Û heft salên bêdengiyê
lê zimanê min
Li çend rêzikên veşartî dericî

**VIII**
ne şevên min ên ku baweriya xwe
bi spêdeyên te bînin mabûn
Ne sibehên te yên ku êşa şevên min hilgirin

Ne 'ez'eke ku
Ji bo mezelên çavên te bikujim mabû
Ne mezelên çavên te yên ku cesedên min ên lewitî hilgirin

xencereke di qêlik de kevnbûyî bû jîn
bibexşîn
Bi mezinkirina dil a di qêlik de nedimeşiya evîn

**İX**

tu
teşîrêsa kindirê ji çîrokên bi kul rûyê min li sêpîkê
şipyayî daleqand.î bû mîna çirûskên îsînê hingivî li çavên
min awirên te di şeveke li pêl jibîrbûyî de, li şêmûga kelama
Qedîm likumî ferhenga min a kevzgirtî û bi kifnik.di
rêyên rizyayî re dageriyam ji tenêtiya xwe ber bi tevngeha
Ku te lê qolincên qelaçî dirêsiya ji rahnên şevê.û tu ji
çarmîxê re vebişirî mîna meryemê.loma bişirîneke kevn
bû li rûyê min.rûyê min kevn bû.

Û evîneke weldizne firidî ji tevzînokên tiliyên me.
Bibexşîn
Ger rûyekî kevn bike
Her evîn parîkî zinê ye

**X**

gerdena te ji zîvên kildayî
Çavên te deryayeke bi gerînek bû
di şeveke şerabxur de
Li lêvên te yên berfdimskî likumîm
Bi ser wêneya eskîzên şerma westiyayî ve
û di çilkeke xwêdana fafikî de perpitîm
Lê bibexşîn
Hê jî newêrim bibêjim ku siya jana dilê te
Li deriyê jînenîgariya min dixe
Û hê jî di xeniqe di gerînekê de gewrî

# SERKEFT BOTAN

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1957ê de li Mêrdînê hatiyê dinê. Mekteba sereta,navendî û zaningeh(beşa mamostetiyê) li Mêrdîne qedandiye.Botan dibêje,'Destpêk û germahiya helbestê 1975' e lê berî vê jî kurmê helbestê'di rihê min de digeriya.!.'
Sala 1978ê hozan Birader çend helbestên Botan dike stiran. Helbestên Botan jî mîna yê pirê helbestkarên Bakûrî piştî gellek salên dûdirêj dibin dîwan.Ew berê xwe dide kovarên kurdî.Herî zêde kovara Rewşen.Botan sala 2003ê helbestên xwe bi navê “ZoMaFer” di dîwanekê de dicivîne.
Di vê navberê de ew hew bi helbestê ne mijûl e;di qada roşenbîriyê de jî li paş namîne.Em ji devê wî bigirin:
'Min Dîrektoriya Qursên Zimanê Kurdî ya Amedê kir. Di damezirandin û rêveberiya Enstîtuya Kurdî de, di damezirandin, reveberî û serokatiya Kurd-Pen şaxê Amedê bi mîsyona xwe rabûm.
Bi derbeya cuntayê ya İlonêa1980yî re hêvîşikestina cîvakê bandor li min jî kir. Pîştî deh salên mişextiyê,vegera ser xaka Kurdîstan, li Qosera Merdînê destpêka jiyanê…
Xebatên çandî û wêjeyi li Kurdistan arîşeyek mezin bû. Derfeta berhemên kurdî an bidestxistina wan û

avakirina arşîvekê li malê talûka herî mezin bû. Min wê demê li bin helbestên xwe navê xwe yê rastteqîn lêdikir.

Botan,kurteçîroka bikaranîna navê xwe weha vedibêje:

Sala 1992 ê ez vexwendiyê Komcivîna Eyaleta Botanê ya duyemîn bûm.Ji ber derengmaniyê ez negihiştim ku tevî komcivînê bibim. Li gundê Mizîzexê di dema pêşwazîkirinê de bultena bi navê "Serkeftin" şanî min dan û gotin ev wê bibe kovareke çand û hunerî. Wê kêlîkê ez şaş û matmayî mam: Navê kovarê kurdî, naverok bi zimanekî din(tirkî) bû. Bi hêviyek şikestî min pirsî: 'Ma gelo wê zimanê kovarê çibe?' Gotin,' di pêş de bersiva pirsa te dê bêt dan.' Min jî wê demê biryar da ku navê Serkeft wek mahlas bikar bînim…

**Berhem.**

Zo(ma)Fer,Weşanên Sî,2003
Çima,Weşanên Belkî,2005

## BİHAR

Bihar nûye
Nûjeniya perda hêviyên gulxok e
Peşkên jenandina kevirhestem
Mocê hestên derya ya sicirandî pêketî
Digşênim dûxana qalûna xwe
Ji dîmenên bircên amedê
Di derya hilnayên pêlên çalak
Pêtiyên agir gef dikir hefada min
Vedişêrim lehengiyan
Li meydana lenîngiratê
Di berîka êşên min de
Terafa cendekê min
Awirên cîhane kê pê kil dikim ...

Ez va li virim amed
Ez va livirim
Kela dezîka te me
De bişikine porên xwe
De girê bide reşekên xwe
Te çawakir ji sebra min
Te çawa dabelian'd
Behna şewatê ji bedena te te
Ax te kezeba min şewitand
Amed…

Bihar noye
Nûjeniya perda berbanga werzêye
Ne min go
Ku bibim rîskêrekî bi ahd û şanevan
Sonda min
Wê bi kevirên te yê rêş bî
Ezê vebixum
Zikreşên keleş
Bextreşên bê text
Xwedareşên bi zext
Poşreşên bê wext
Qafreşên teres
Pûştreşên bi dek
Zolikên çavên geş
Xeniqîm li nîvrojê reş
Xweda reş
Metran reş
Mizgeft reş
Bext reş
Kevir reş
Reş
   Reş
    Reş …
  Reş
Reş
   Reş
      Reş
Ma wê kengî
Reşêşikên baranê bibarin lo
Xubariya xunavên doberanan

Ne min go
Ku bibim rîskerên çar tayên porên te
Ezê daqurtênim kelehên girtîgeha
Tev mazgehên dîlbûna te
Û vî bajarî
Teva goristanê zindî
Kaş bikim li pêy xwe ...

Bihar nû ye
Nûjeniya sal vegerên emrên nîv qurmiçî
Lê dibê ku ez rabim ser xwe
Kaba bavêjim
Çik bikim sitûnan li bin ezmanan
Biçinim lêmiştên lêvên qeresiyokî
Melodiyên nuhurînên keseran
Bişeridênim gulîkên helbestan
Bila hesret şîn vexun mirada
Ji bayên besta
Girên herdû çavan te
Lê berî ku werz bengîniyê ji bîrbikin
Hesretên ewravî
Diburusun di nava zeraqên stêra te de ...

## HEZKİRİN

Ma çima tu tiştekî nabêjî? Ji rojên rijî re
Qey tu nema hez dikî ji me?
Ma ne me her roj bi lêvên roja liberava
Hal û wextên esrên teng dişeridan ji ser zimana
Hîn derbas nebibû sî di ser kiraskemînan re
Ji dengê telefona, roja di destên te de
Zingînî dihat ji zingilê kerrîneka guhê me
Berî ku te xatir bixwesta ji ciwaniya xwe

## TE BİGOTA

Min ê hezkirin bi per û bask bikira
Ji kihêla dayika te re li perên ezmana
Bi şirîta listoka destê, hestên xuşka te
Kolanên şeva nîvê şevê daniya ser derza pişta xwe
Pê de rapeliqiyama
Di nigê nig şevê de ez ê bihatama
Min ê xwe bigihanda hawara kemîna te

# EŞQİYA

Bi destarên destik zêrîn, destê sibê dihêrin
Loda nifşê eşqiya ji eşqa binevşên narîn in

Deriyên xêrê vebûne li başûra rojhilat
Kewên gozel diçêrin li nav pirêzên berzan
Li şingal û serhedê pirr dane qendîla dil
Qêrîna ap û pismam esmeriya kurdistan e

Tîrên girava eşqê pêl bi pêl dialêse
Hêvîsiudên rizandî ji textikên aniya

Satorên biqifil û miftên bivirên seqakirî
Li korxaneya ehrîman kef û girêza bixwîn
Bi tilîmelhêban didêre fediya bêfediyê

Hertim karê te ev e !.. Tu pîjê aziba î
Tim guhên xwe bel dikî li şûvên serxwebûnê
Tu derzek derizandî di derzên movikan de
Tu qunderza deziya derzîdanka rima î

Ma kê birûsik çinîn? Ji ezmanê cîksayî
Ji zînê zerzêrînî bûkên baranê kor bûn
Kê besa seyid riza di rizda raza werkir
Kê bilbizêkên biharê li bûkên salê rijî kir

## Çû

Wê şeva ku tu çûy şivanê sitêrkan dîn bibû
Heyv xeyidîbû ji kirasê xwe
Ji ber ku rojê dabû pey sêwirandina
Sibe ewiqîbû li bircên keleha kaliya çavên te

Ma te çawa ew jiyana têr û tije
Turbendên wê avête serê sifirneyan

Di şevreşka şevê de li evîna te rasthatim
Min peland rûpelên lenûska lîseya te
Şax û guliyên dagerandî seridîbûn
Fûriya rondikên kerbê daweşiyan ji derdawên wê
Lê dîsa jî her roja çarşemê berî siya şevê
Bi çîrkên kelqîjana dilên xwe
Ez ê findekê vêxim liber kêlika te
Ji bona ev bajarê ji xwe xerîbketî bê ronahî nemîne

## MİRİN...!

Hey:
Dayîkên aştîxwaz
Mirin pengizî ji goran
Werin secde bibin ji ehrîmanan re
Û xwe tawanbar kin
Li zincîran xin malzarokên xwe
Bihoninjana ji porên termê demê
Giriyên xwe biçînin li reşikên çavên rojê
Di nava tilîkên xwe de bişkînin temberiya
Terlanan
Û vedin goristanê dilê xwe
Guliyên xwe biqusînin bi ser kezebên xwe de
Hey:
Dayîkên Amed û Silêmanî
Bila sax bin pozqulingê sermiyanan
Bikolin bi xîreta pozê wan
Goristanan ji Amed hetanî Silêmanî
Bila mezintir mezin bin li gora erxa devê nokeran
Û bi qasî temenê rojê dûdirej
Welatekî bêsermiyan diricifim ji tîna bê
Med-girî dayîka dîrokê
Ji hêstirên çavên te stêrk fedî dikin ...

## ÇÎKA ÇİYAN

Her êvar govend digirtin
Hest dibûn şitilên gulan
Reqsên sermest vedixwarin
Tîn dida kûra dilan
Dest didan destê sterkan
Serê çîçikan çik dibûn çîka çiyan ...
Hey . .!
Delalê
Zanim sedem sersariya salan e berê zayînan awiqîn
Li berbanga jiyanê pîçên pêvajoyan dizîn
Şîr ji elbikên guhanan ...
Dem xirifin di hêlekanan de
Hêlînên ji biskên spî
Bêrî li beyaran engirîn
Nalên hespan qurimîn
Ken qurifin
Ji qurifandina
Ka
Geştiya eşqê
Li ku ma ...
Wê çawa be
Ji bona xwedê
Lal mane pitikên demê
Tev xeyidîn
Nakin gix gix
Nabişirin
Bi pêsîrên dayîkên xwe re ...

Hey!
Delalê
Çîka ba hat germa tebaxê weşand
Hest di newalan de mişt bûn
Lêmiştên stêrkên rijandî
Di besta dilan re herikîn ...
Nayê bîran çend payîz in bîranîn bi xuşexuş in
Bi xwe re birine leylana
Kezeba çolan diweşin ...

## HİZİNÎN

Hizinîn
Pelên spîndaran
Xişinî hew bi xişîniyan ket
Birîndar çûn heynên lewendî
Va min kom kir xişexişa
Êşên salxela
Bera kolanên te dan
Wênesazo
Lo
Ma ka tu karî
Ji min re wêneya berfa helandî
Biesirînî ser pelikên dilên esirtengan
Ji kevneşopên avrêjinên dêrîn
Û şopên nepeniyan
Meşa
Di berfê de
Bikî peyka azadiyê
Ji stêrkên hizinîn re ...

## PİŞK

Koncalên çavan xwe ragirtin
Ji kîskên xeman
Bendekên hêviya man bêxwedî
Û tu nehatî
Ser delavên çokên min
Me yê du gotin
Bikira bi delalî
Vexwarana tasek dewên çortana
Yê bi pung
Xewrak dimsa babîla û hêken sûsika
Ku ji keriyên xelafilitîn
Ji hebana tutina xursê
Yek du hilm bikişanda
Li bajarê biloka ê bin axê
Ho bikira neynika esmana
Bila bela bibûna molekulên kesera

Ku tu girêdanê bi girêkên kor
Ji mîta qal û belayê ve
Û ku pişka te
Li kezebreşiyan ketî…

Daristanan kulîlkên bêrîkirinê weşandin
Taristaniyê nego bes e
Hezkirin bi zerzengê xwêdana ve niqutîn
Ez tî mam
Di hevoka besê de

Ma van çavan
Çi dî û çi nedî lo
Derya sebrê qul bû
Kewiyên kula re diherike
Xwe xewle dikim
Ku di guhên stêrkan de tenêtiya xwe vebêjim
Bi zimanê qaçax
Helbestek birîndar

De hema bi xwedê ku min
Wek kiskê dewê diya min
Bi darve jî vekin êdî ne xem e ...

## ZO(MA)FER

Ji pêşengên wêjevan re
Raxistinek miştaxa esmanan
Ji neqebşevan mirin dipelandin
Ji palçiyayên tevizandî
Bêhna
Kulîlkên bihîva
Şevbihurkên kal
Dikeyandin bi hilma şevê
Gencîneya tenê peyva
Reqsa penûsên delodîn bû
Ji pêşmalzimanê avesta
Bizarkerên
Lahtên winda ji nîgariyên incika vê erdnîgariyê ...
Mexelên gonxwarî beridîn
Ji esmeriya te
Dane riya çûn-nehatê dil ranazê li qesra raza
Dil bû pêlên derya baza
Dil bizikra derwêşan ket dil bû evdal
Dil li refa çiyan vêket dil ricifi
Dil ronaka roja rijî
Dil bû ava li girava ...
Li şîr mane peyamên xav

Xêza tariya bêbext de axîn noqî derya dibûn._
Ji nepeniyên rênasa şevên bi lêz
Şevên bi bez
Gavên gumandî hil kirin

Daw û delingên hevrîşim
Dibûn heval
Bi stêrkên hevalan re ku pir dibû ji bêhna axê
Ku zîz dibûn bi destê sibê re bablîsokên çavên semîramîs
Diherikîn
Guliyên edûlê ...

# CÎHAN ROJ

## JÎNENÎGARÎ

Cîhan Roj 25ê Rêbendanê sala 1995ê li Gundê Înaqa Gimgimê ji dayik bûye.Dibistana seretayî li gund,ya navîn û lîse li navçeya Gimgimê xwendiye.

Roj,piştî kutakirina Beşa Mamostetiyê Ya Zanîngeha Behra Reş Ya Teknîkî, dest bi mamostetiyê dike. Despêka bi kurmancînivîsana Roj 1993 ye.

Di heman salê de helbest û çîrokên Roj di rûpelên kovaran tên dîtin..Dîwana wî ya ewil 'Ratîka' di sala 2002ê çap bû.Bi dû vê dîwanê de,Roj berê pênûsê xwe da beyarên çîrokê; û biryara ku demeke dûr û dirêj berhemên helbestî neweşîne, da.

Cîhan Roj niha jî mamoste ye, li İzmîrê dijî.

**Berhem**

Ratîka,Wş.Sî,2002

Meyman,Wş.Lîs,2006

# DİKARİM Bİ EWRAN BİGİRİM

Keresiyên welatê min jî
Mîna ruyê te ê bi tavî bûn.

Hêviyên boxçekirîne, mane li ser per û baskan;
Bi dilek safî ,
Û bi hubreke şîregerm...

Ezê hew bişkovek bistiyên te li şevên xwe bikim asoyek safî bi ken .
Rojên xwe bikim boxçeyek , li baskê dil bikim
Dîsa bi biryarekê bi qasî berbangê sivik û paqij
Bibim dergûşek, xwe bi sînga jiyanê ve bişidînim.

Wextê te di şûna araviya dil de zarokekê hembêz dikir,
Çavên te kevzeyê di tariyê de dihişt;
Jana min hebû lê nizanim li ku dera min dida,
Mîna guleya nêçîrvanekî li lingê şêrekî birîndar bikeve...

## ÇÎROKÊN Bİ ÇARPÎKAN KETÎ

Min hezkir ji çîrokên bûn dergûş û bi çarpîkan ketin
Min hezkir ji dengê avê ê ku di qatên şevan de tevlî dengê dilê min dibû...

Li kaniyên li ser rê û dirbên dastanên pînekirî kena te bila tevlî axê bibe
Wextê per û baskên çivîkekê derî li birîna te vekir , gotinan biçine
Bi kena şîrîn, bêhna axa baran lê barî bike gotin û di dilê xwe de lala bike
Bila ev ji germahiya qewlên min û te de bibe tayên lihevketî ên giloka li dil hilnayê

# KULÎ POŞMAN MAM

Kenê te û demê lihev dikin
Çavên  min û dilopên barana payîza dereng

(Wextê te derî bi ser min de qefiland, min got qey sawa Nebiyê Axirzeman û Îsa li ser her du milê min in û ez bûme Mûsa li ser derya exlaqê dimeşim..!)

Tu û keweke derbiharan de bask lê şil bûyî lihev dikin
Ez û kokek dara spîndarê ya di dev çem de hatî birîn

(Tu îja jî biskek ji pora xwe bi lêvan şeh bikî û li benda min bî daku ez derî biqefilînim ez dê bi qirşikekê re lihev bikim ;bi ser lehiya kûrahiya dilê te bikevim...)

## Bİ SİLAVÊN PİŞKİVÎ RE

Bûye ken,û li parçeyên hewran şîn hatiye...
Diherike av ji belekiyan de...
Diherike bi ser kevirên bi hine de çîrokên devkî...
Ken maye ji masîgirên li qeraxên çemê şîlo re...
Bi silavên pişkivî re ,
Devlîken û xem li ber fetisandinê...

# TARÎ Lİ ÇAVAN KİLA QÎRÎ

Maleke tarî,lê çemên biharê,
Febrîqeyên cixarê
Û hemî ayetên ji fenên împaratoriyan hûnayî.
Fermanên li ser janên me dibûn parçeyên hişkerik,
Gilokeke ji berfê ye,
Bi neçariyên stewr dihele .
Çem li pirtûkên bi zimanê xav diwerime.
Ji zarînên pirtûkan,
Min şitla li devê kaniyeke piçûk çandî bîrve kir…
Çem bi gilokeke berfê cîhanek da ber talana xwe,
Kanî hê jî li reha xwe rast nehatiye.
Malek û tê de evîn bûye agir ,rûpelan dişewitîne;
Hirîna Kileopatrayê
Û her gotinek li dora min dibe zinarek,
Tîna riya ez tê de tîrqetîrqên Kileopatrayê yên fetisok
Dişewitîne.
Hilma ji axînên Mem li maran dibe dûyekî tehl î zirav
Û aniha dilekî azad bibûya keziyên hevrîşîmî…
Kenekî û çîrokeke evîn tê de gotinên şêrîn in li vê
Tariyê birista,
Min dê çayeke tarî
Û hemî çîrokên avlêketî berda ser zimanê ruhê azad
Û ez ê bi nermiya porê wê bi rê biketama.
Çî qas xwêdan li min wekî kaniyên Serhedê der bibûya,
Min dê bi siya tayên bişkivî,
Careke din risteyên evîna vî welatî birista.

Vê kêliyê,
Benekî rizî ye
Bêhna qutîka cixareyê bi hawara min de hat
Û merheba însan,
Hubr li evînên we diherike…

## SÎSAR

Şirîna tariyê bû bê pêl diherikî,
Di nêrînên avis de ro diçû ava…
Ji biskan de agir di xwêdana kekê min de vedimirî.
Şûna lingên wî wêneyek li dîwarê xwe digeriya .

Bi baranê hat şuştin,bi pelan hat nixamtin.
Dewrêşên şoreşê di tariyên riziyayî de lem li bext vedigirin.

Diya min laçik li hêsiran kiribû bend,
Deng li gorê diçand:
"dilê min rê dikişîne
Xewn li min sikesar,
Va ye min dil dîsa li ber serê te hişt."

## ÇİV

Îbrahîm li êgir bûye av dîsa
Dîsa dem dibe destpêka çîrokên neguvaştî

## TÎNA PÊNÛSÊ

Û dem kêliya li ber devê şûrê şêr
Pênûs şara zirav
Li stuyê min.
Bihar e,
belekî hêsiran sar dikin.

# OSMANÊ MEHMED

## JÎNENÎGARÎ

Ji hevoka bi devê Osmanê Mehmed bûyîna wî:

'Ez di behara 1978an de li gundekî bi navê Qudbê ji dayîk bûm ku bi ser Nisêbînê ve ye û niha wêran e…'
Osmanê çak û ciwan zanîngehê naxwîne; li Nisêbînê Lîseyê diqedîne û hew…Ji sala 1995an û vir ve şi'rê dinivîse. Heta niha di çend dezgehên weşangerî û kovargerî de wek redaktor û wergêr kar kiriye. Şi'rên wî herî pirr di kovara Rewşen/Jiyana Rewşen de; bi dorê: Dugir, Nûdem, Kevan, Nûbîn, Rewşen-Name û Nûbiharê de belav bûn. Piştî mewayek li dor sal-salûnîveke li Silêmanî, niha li Stenbolê dijî..
Ji zaraveyên Kurdî (Kurmanciya Jêrîn û Kurmanciya Jorîn), ji Turkî û ji Farsî veguhastinê dike. Heta vêga dîwaneke Osmanê Mehmed çap bûye.

**Berhem:**
Gul û Cin û Kavil, Weşanên Avesta,2002

## BİRÊVEÇÛNA GULÊ

Ji kavilê min
Ji baweriya min
Berxikên zarokatiyê
Pê li hişê min kirin û çûn
Zurçik li dil şîn hatibûn
Dil -sor kavil-
Li guherê

Bi rê ve diçûn niha
Şivanên li pêçekê hê
-nobedarên her dem ên qesr û gulê

Min ê birêveçûna xwe bidîta
Ji serê memikê ta bi toza eşqê
Eger li şiyariyê bama
Weke şivanekî
-heta bi şevan û şînan-
Li erzêla lêvan

Çiya ye hemû cîhan
Çiya û çivîk in hemû sibeh
Li ber serê gulekê
Guleke ku nû dize
Guleke ku bi rê ve diçe
Gulek e dikeve
Çiya naheje

(xew gur e giyan bê gor
Li ber siyeke wek a gulê
Xeniqand berxikê min
Awirên tava heyvê
Tagirtina şivên
Dil berx e axx
Hemû zarok li şînê!)

Min gul maç dikir bi nobe
Qesra ku yar lê duderî
Gulê ez disotim bi bêçareyi
-deriyê qublet ji bo birindarên gulê...

Tu di deriyê bakur ve were ey sirra gulê!
Ey gul! Tu xencerê bi xwe re bîne
Û di deriyê *tarîxan* ve were
Bo kuştinê.
Nobedariya qesrê bi pelê te ve xwîn e
Yara li qesrê perî ye cin e! !
Di qubaleyekê de
Sûretê çavan
Esîr
Di yeke din de
Kabên zarokatiyê
Tarî
Şîn e li hemû pirpirînekên mizgîniyê
Cesed li ber roniya pencereyê

## KUŞTİYÊ GULÊ

Carekê herim bibînim
Wekû tu car nebînim
Rûyekî
Gava çav bi girî hişt
Li ber qaşûlê darê
Qaşûlê bi bêhneke dûr a beharê
Wê kêliyê bi siya xwe daketibû mirin
Û dirêj bû
Dûr bûn dest û tilî jî
Weke wê berûya ji zû de qeşartî bû dilekî tenê
Careke din herim bibînim
Wekû min hîç nediye
Wî rûyê bi xwîn
Careke din...

## DÎQKIRINA QEREÇIYÊ

Qereçî wê di pişta beyaniyan ve dîq bike
Ku Qereçî dîq kir û keniya
Tu ê nû bi hetava hezkirinê bihesî û dilê xwe derxî devê derî

Wê keziya xwe berde ser dîlokê
Û bireqise li dor rû û êgir gelo
Qereçiye?!
Piyên min hingî gêj bûne
Ji wê bêxewiya te ya mîna beyarekî
Mîna dareke berrî
Di ko kela bêdeng ya evînê de ji xuşexuşa pelan
Ji kizina madzer
Weşiyaye evîngêj bûne piyên min
Û dewsên wan li hemû ewrên sore belav dibin

Lê Qereçî
Min soringek jî danîba ser lêvên te
Da hema vê carê wer nebûbana
Ji deviyan

## ZÊRKA ZÊRA

Min ji çermê maran
Ji reşeşîha bin sêdaran
Şevek çêkir
Û min dîsa li ber tehtên newalan danî
Paşê li wê qurçika zerînî
Bi tirseke kevakî
Min Zêrka Zêra dî:
Şev tev kulmek agir bû
Di wê dilketina
Kevirk û kevirk
Darik û darik
Hêsirk û hêsirk de
Û barê fecrê mişt tenî bû

Qirşikên ku te dan hev
Tenêmana te ya li nav lepê tirsê
Hawara te ya bi lerza gulekê
Û banga hirçê bi dengê pîra te
Hemû bûn deqên mirina zû li eniya te

Zêrka Zêra
Min dev ji te berneda
Eva piştiyê te
Hemû hebûna te
Dilkê dila

## QESRA XERÎBAN

Bêqirar e deriyê qesrê
Vebe venebe
Şahê berûyan e rû
Rû; siya ser garistanê
Peykerê avê
Sultanê heyvê...

Bêqirar e ba
Mewsima dîrokê ev ro ye
Agir li av û heyvê ye

Heft cinan dara qesrekê girtine
Heft cin di tirbeqesrekê de zane

Pelên *tarîxan* di destên rezan de diriziyan
Di hundirê qesrê de pencere bûbû nîştiman
Çendî zêde dibûn dastan

Cin bi behsa cinan dizan
Tirs bi behsa xerîbiyan
Çendî fireh dibûn qesr

Di tirbekê de giyan dima
Di tirbekê de çermê mar
Hestî gava dibûn dîwar ji pencereyê re
Kêl gava difiriyan ber serê zaroyan
Û xwîn gava dibû şirik bi derî û stûnên qesrê ve

Ew xerîb bi qîma rayên gulê û bêqirariya xwe diman
Ne rûzerî ne jî bi giyan...

## FİRMÊSKÊN ŞİKEFTÊ

Hatin min dîsa cinên şikeftên kevin
Weke hezkirinê
Mîna jinê

Ez ji hesinê tirsandinê dûr çûm
Ji teqandina tivingê xwe birrin gavên lerzok
Û wê gavê,
Gava girî li serê Agirî bû
Dilê ajelekî winda ji zemanê nebî nûh
Bi min ve giha
Û gotinên min dibûn pencên pilingan

Ku ezman sayi û bêguneh ba
Wê firmêskên melûliyê biketana
Ser kevirê cinan
Ku wê gavê
Ez hebûm
Û toz
Mîna hezkirinê
Weke bayekî

Lê di nava xwe de dizîziki her tişt
Û ba...

# HEJÎRA MARAN

Ji *bo Firat*

1.
Dîloka ku te diva
Dilopek ji xwîna karxezalan
Û ji aciziya dara berû
Rimekî nehejandî di şerê şervanan de
Nabêjim wê dîlokê na
Kesera dil narijêm bo du deriyan
Ku dîsa vedibin li bindestiyan

2.
Serê hestiyekî du hestiyan
Bêhnpêketin li bêdemiyê

Û li paşila reş a kavilan
Mîrûyan dibîne Hejîra Maran
Û keviran
(ku bi hestiyan re xweş li hev dikin)
Ji bêhna xwe dikeve
Ji hejîrên xwe -yên kes wan naxwe

Serê kortalekê du kortalan
Rizîbûna dil
-koçer, çima wiha diçî bêyî min?

(ezman dawa xwe bi serê xwe dadike)

3.
Dilê min dirize
Bi her rêzika vegotina te re
Li nav hestiyan li bin siya hejîra te
Ez im difetisim
Berî birize dilê te jî
Here rûnê li Sinê Doşanê -li hember Dojehê
Û ji Anahîta re tu bistrê:
*Bi ser venebim nebînim şopa Mem*
*Nebînim di tariyê de wê Roja Zer*
*Ew kokel bim ew birc ew dukezî*
*Bi Zîn li pey Mem*
*-eynî wiha siwar li Bozê Rewan*
*Ji mij û moranê wê de kuştin e*
*Kuştin e bi bêdengî bi şahî*
*Û deqa reş e rûyê reş e li sînga dîrokê êdî*
*-ew dîroka nayê zanîn ji wê Nivişţê pêde*

*Lê hetikîm ez hetikîm*
*Dema li nîvê çolê sekinîm*
*Û min bi nav kirin hezar rewşên te*
*Hezar navên te bi lêv kirin bêfedî*
*Mixabin min tu nedî bi çolê*
*Min tu nedî mîna xewnê mîna Mecnûn*
*Û li ber derya tîbûnê*
*Min li xwe nihêrî di ewrên nimandî re*
*Û min tu dîtî*
*-li wir li ber serê wê hejîrê*
*Weke xunaveke fetisî*

Bi dîloka qedîm re hino hino
Kevzê bi wan digirt hestî
Û giyan xwe li kavilan ji bîr dikir

Mîna gopalekî mabû Hejîra Maran
Li destê reben î çiyan

# PARİYEK Jİ ZEMÊN

Tu û newal tevîhev dibûn
Tu û kavil bi ser xwîna min de gêr dibûn
Û tu baş dizanî ji dûrayî:
Li Girê leh hewayeke xweş bû
Hênikayiyeke dilhisisên bû li sinê tavê
Ewrên gozelli guhera tozê
Li ser bejna zirav a diyarê çêrê

Tu û guher
Ku hûn ji siya sin dûr diketin
Ez û tav
Ku me sûretê bèrbangê li soringê didanî
Ewr û toz
Ku bayê Niha wan li hev dizîzikand
Ez û tu
Awirên me li Şikefta Berehînê
Gavên me yên berepaşkî li latê
-li hêlîna xewê...
Em li Keleha Qeretajdînê
Û te hilma xwe bi meşa hespê kulek
Ji ser dîroka qulibtî radikir
Ber bi du qurmikan dianî

(Ew hejîra berrî jî heye
Ku nema ditirse
Ne ji xwendina kewê
Ne jî ji mitaleya pepûkê)

## MİRİNA Bİ DESTÊ TE

Ku min xwe ji kokelkên ber pehîna te vedizî
Ku ez dîsa bê ba û tav û yar hedinîm li milê tenayiyê
Heger ew qesra tu lê
Bû agir û bi dilê min veda
Na, xwîn min naterkîne
Û bahozan wê li pey xwe rake kitêba ku ji kezeba min
Mirin li xwe kom kirine û çûye
Wê min ne sar be kêliya ewil
Lê ew her du gavên ku min
Ber bi keviyên deynekirina te avêtine
Wê sartir bibin ji mirina giyan
Û li bîranînên te bicemidin

Kitêb û mirin
Du qesrên kavil in niha
Çavên te bê gul
Dinya sipûsar

## VEGERA BÊSÊV

Dema ez diçûm Bazinê Taqa
Dema tu lê bûyî
Ji bîr nakim, na
Gava min te şibandibû qumrîkên ser wan şikeftikan
-şikeftikên ku hetav li lotikan bû tê de
Û bi kêzikeke hecê re germ bû dilê me-

(marê te wê bê min qey
Min hin ji ava hewtikan negihandibû destên te?!)
Gava tu dihatî wî kavilî
Kêliya ezman ji rengê şikeftikê vediguherî rengê pêz
Te gazî min kiribû
Ji bedêla min bazek hatibû
Di ser serê te re bi qîjeqîj
Xwe li nav çavên rojê dabû
*Çavên te zeviyên li bêbaraniyê*
*Ku tê de ne siya hejîrê ne ya tûyê*
*Li rûyên şewitî yên dildarên te*

Barana sawa te bû wê gavê
Di wîşerî de
Xwe li wan taq û stûnan
Kiribû şape
Çend çûke din ji lêvên te bi firê ketibûn
Ji dîna rojê dûr
Te ew nedîbûn
Heta serê hespê min

Xwe dabû der ji Borê Qasim
(ji kelehên xwedê min
Xwe berdabû jêr!)
Ji zû ve pûç bûbû sêva ku te dabû min
Û min, axx
Di dawa te de ji bîr kiribû
Beriya ku ez herim

Ez ê bi keziyên te xwe bixeniqînim
Hê ku neriziyane
Min bikuje
Hespê min ne yê lehengan e min bikuje
Ez nefirîm ser serê mirinê

Reş bû mirin
Û bi keziyên reş e
Ew ava ku car din vexwim bi lêvên te
Tama guleke reş
Bi gula reş e dîdariya min
Bi temamê çavên te re
Li şeva reş im
Çogên min li ser axeke nenas
Dilê min li ser sêva ku te dabû min
Rûyê te bi heyvê vedabû berê
Çavên min li delaliya rûyê te
Li ser pelê gulê me, xwîneke xunavî
Hê pûç nebûne dem
Hê ku neriziyane dil
Were xwe li stûyê min bade ey kezî
Li nav bazin û taqên ketî

# DOST ÇİYAYÎ

## JÎNENÎGARÎ

Dost Çiyayî di sala 1972wê de li gundê Qelendera ê Mêrdînê hat dinê. Li gund, Mêrdîn û Qoserê xwend. Di 1991an de kete Faqulteya Perwerdeyî ya Zanîngeha Dîclê. Di sala 1992an de êşa gurçikan lê hasil bû. Du caran emeliyat bû. Bi enfeksiyona jehrbûna xwînê, kete komayê. Di demeke ku her kesî jê hêvî birrî de, li jiyanê vegeriya. Ev bûyer, li ser fikar û jiyana wî rêçeke domdarî hişt. Di sala 1995an de ji beşa Mamostetiya Seretayî mezûn bû û dest bi kar kir. Di heman salê de jî zewicî. Bi navê Baz lawekî wî çêbû. Di vê navberê de di kovarên *wekJiyana Rewşen, Nûdem, Nûbihar, Pe!în* de helbest û çîrokên wî weşiyan. Ji Metin Kaygalak, Muzaffer lzgû û Murathan Mungan wergeran kir. Li ser riya Festîwala Dêrsimê, di havîna sala 2003an de qezayek derbas kir û jiyana xwe ji dest da.

**Qetran** kitêba wî ya yekem e.

**Jînenîgariya Dost Çiyayî ji dîwana wî hatiye veguheztin(A.A)*

## QETRAN

Ji qetrê sader qehr û risas
Bi mohreke sincirî re hatim helandin
Li hemû dergehên demderewîn yekcar
Min qufiland dilê xwe yê têrxwê
Bi kerbekê re hazar car min lehimand
Keserên kiras zingar
Dil û rivîn
Kul û birîn
Wekî teyrekî bêzar di şîrê xwe de hatim parzilandin.

Min guh da nalîna dengekî hinavîn
Û dawîn min xwe kuşt di şeveke şafiî de
Bi sewta saweke sefran û seferî
Suhurîm, li seherên sar û sêwî
Ku hîn nizanim bê bi kîjan surperiyê re
Li çerxa kfjan zemanî dizîvirîm
Da ku gihîştim xawêniya bêdengiyê
Meyam li nebîniya şevên bêstêrk
Û min heyvanê xwe ji heyva nava xwe girt
Zeman û zemherîr
Ziman û zehîr
Wekî marekî bêjehr di kevirên sebrê re bihurîm

Rûpel bi rûpel ji nû ve hatim qulibandin
Deftereke bêxwedan û bêxwenda bûm
Lewra beriya bab'ên bêbinyad û mishefên reş
Li seyra sîmirekî sîmyavan hatibûm nivîsandin

Bi çavên çelq çelqiyam û min dît eareke din
Li raserî wêrekiya xwe ya rehwan û dilovan
Kelam kavil, wate wêran û xêzên xwedayî
Li binya temberiya min ku gunehkar dixwiyan
Reml û reea
Rene û rewa
Wekî bînerekî kor ji çavan dirijiyam

Min hilgirt helkehelka hêla xwe ya helak
Û xembar dageriyam şiveriya şevên xas
Li şopa şivaniya xwe ya kevnar
Ji refên xwe dûr ketim mîna qulingekî hejar
Min rûyê xwe şûşt û vekişiyam ji mezata gotinên xav
Lewendên lewçe û quretiya berêvariyên erzan
Lewma peyayekî pêxwas û ûryan bûm
Dema ku min bêtirs xwe avêt bextê zimanê maran
Şêrekî şîrşor bûm li şarê şaristaniyan
Şîrove nedibûm tu car bi şêrîn(ba)zaran
Dilop û derya
Mirin û dinya
Wekî çerxekê di xwe de gêj bûm

Dev badan devên devdeve
Dêmên dêgur, çeşmên xure
Min pelên zer li xwe pêçan
Û min nixumand melûltiya xwe ya bêtam
Ji edeba piçûkatiya biran
Ûxwarina bi dizî ya li pişt kewaran
Weke pîneyekî payîdar ku mabû yadîgar
Çi bêjim nîvco, çi bikim kêm
Gerden û morî
Zarok û dûrî
Wekî kirasekî, li janan hatim tefsilandin

## XEWNÊN XWÎN-LİXWEKİRÎ

Zirav-bihîst-yar im
Dil hilbijartime mertal
Gerden xalî, mişt xeyal im...

Rimên dirinde rêz girtine
Xirxalên zîvîn li zend û bendan
Morikên kehrebarî ên gerdankan
Û di çirûskên çavên te de hêviyên min
Mebest girtine, dilalijin
Ji kengî ve li benda te ne!

Dem dawiya payîzekê
Şev derbasokên xwîn-mij
Bêdil be jî berê rojan
Ji êvar de dikeve alî koç-giriyê!..

Xelekên por-goşî ên dardakirî
Li kû dibînim werîsên mû-rîs
Girêkwîr dadigerin gewriya min.

Tilîkên te ên ziravokî nermoke
Min didîtin
Diveguherîn bizmarên ji pola
Û devê bivirên ser-jê-ker
Ji hev diçirvirî!

Dil tenik
Berbang hênik in
Ax... Aax!
Xewna welatekî min didît
Dê-ferîşte, bay-fille
Li xwerû xerzên zeytûna zarokên wî
Kevakên firfire hildiferandin
Li esmanan xelekên gewez daliqandî
Ên xwe teqle dikirin tê de dialiqîn
Ji jar de li hêşînahiya azadiya behran daliqandî
Difericîn...

## JANA CAN

Hênkahiya berbangê
Li pêleke berizî siwar dike min
Ji xewneke giran.
Car caran bêhna te dibihîsim
Katikên rihanê di nav de guleke sor
Hîn di xew de
Û keziyên roka êvar a zer
Di rengê biskên te de bengîn
Dikeve bîra min,
Awirên te ên tund divejin û disincirin
Di tasên çavên min de...

Rivîna xwe berdidin nêrînên min
Şitlên mijankan
Bi du dilopên bêpele têne avdan
Û diherikim abîsa di!
Tev li te,
Ji avzêyên çavan bêriya te dikim
Jana can!

## HÊVÎ MA BUHAREKE DİN

Rextên mircanan şemitîn ji ser hev
Ji hev xeyidîn
Lêvên pûç û paçikî...
Dil bû dojeh
Kul bû kavil
Pî û mil bûn rêsî
Pelên mabûn dawiya payîzê jî zer bûn
Zivistaneke din li derî dixe
Guliyên zeytûna li hewşê
Nema min radike.

## AV XEYİDÎ/HELEPÇE

**İ**

Ev bû çend car nizanim
Nizanim bê çima bihar
Her adar
Di sehera silavê de
Dîsa weke her car
Li şûna mijmijokên maran
Diveguhere îskeîska avis
Û şîna rengan digerîne?

Nizanim
Nizanim ku mozhingiveke azad
Li du bajarekî bêrîwêran
Bê xwe li çi datîne?..

**İİ**

Ev bihara çenda ye nizanim
Nizanim bê çima baran
Her nîsan
Dîsa li van deveran
Bi ar-aveke qetrejan dibare
Û ji lehî daîm xwelî
Ji ewrên keskavî mirin diherike?

Nizanim
Nizanim bê beybûnên berfekan
Li vî erdî çima reş dibişkivin

Û dixeniqin sosin?..

III
Ev bû çend car nizanim
Nizanim bê çima aran
Her gulan
Dîsa bi xewnên xwêdayî
Weke nêrgizeke xedayî
Xeydok û xopan dişitile
Li sûretê serabeke bêav?

Nizanim
Nizanim çima di xeweke bêwext
Û çolemêrgeke beyeban de
Li min der dibe teba dewrê
Zer diderize şewat û dişemite şevê?..

## BAZ

Tu ê jî mezin bibî helbet rojekê
Piştî rojekê li dawiya rojan mayende
Qencî/xerabî, aderî/binketî
Du nasnameyên bî/mayî ji laşekî
Dijberî hev û tevlihev/sar ango germ
Dê bibine diraxe
Li hêviya bijartineke neserbixwe
Û riyên tî û dirêj du reh wê bikişin
Ji serê pozên pêlavên te.

Rastî, ji du robaran bi hev re
Yek tal û yek şor wê biherike
Şêraniya şetê dilê te yî xas,
Û baran
Tenê ji bo. Tawanbariyê wê bibarin
Ji pêlên pêdiviyên bêdawî!

Bazê min!
Li êvara neheqin û qet ji bîr neke:
Êvar neheq in, şevê carekê
Wê ji te veşêrin ronahiya rojê,
Xefik û dahfik derbasok in
Dema tu jîr bî
Û eger li kelem û kemînên şevê nelikumî
Berbang ne dûr e
Stêrkên çavên te bi xwe ne!

# CEMÎL DENLÎ

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1968'an de li Gundê Diêma Qoserê hatiye dinyayê.

Dibistana seretayî li Diêmê, ya navîn û amedeyî li Qoserê xwendiye. Denlî piştî kutakirina Lîseyê li Enqerê li Zankoya Hacettepe Beşa Ziman û Wêjeya Frensî xwendiye. Ji sala 1996'an heta 1998'an Redaktoriya Kovara Rewşen kiriye. Di 1999'an de di derxistina Kovara Qerfî Pîne de cih girtiye.

Ji bilî wergerên wêjeya ji frensawî, di birek kovar û rojnameyên kurdî de nivîsar, qerf, çîrok û helbestên Denlî hatine weşandin.

Dîwana Denlî 'Tav û Leylan' ji nav weşanên Weşanxaneya Bajar di sala 2004'an de çap bû.

Cemîl Denlî ji sala 2000'î û vir ve de li Swîsreyê penaber e.

**Behrem:**

Tav û Leylan,Wş.Bajar,2004

## EW TAV LEYLAN Û ÇAVÊN TE

Ne ew tav bûya
Min ê çardeh qirnan
Av vexwara ji wan her du kanîkan
Ew tayên porê te
Min ê di hemû çepera dil de biçanda
Bi emeletî xwe hilkira heta çongê
Bêr di dest de
Di hênikahiya her sibehên xwedê de
Av bidaya

Wexta ku te got "hezkirin bi te re nemaye"
Kelemên peyvên te li kezeba evîna min ketin
Xwîna lokekî jê çû

Ne ew tav bûya
Evîna min a birîndar nedibû leylan
Ûli ber çavên reş winda nedibû

Ew çav talde bûn
Çilê havînê li ber siya wan
Çilê zivistanê
Ji ber pûk û bandebê tê de distrîm

Te got "hezkirin bi te re nemaye"

Ez ê rahêjim şûr û mertalê xwe
Behrîbelek ji mîrze mihemed bixwazim

Ûderkevim seyda peyvên ji çavên elsayê re nehatine hûnandin
Berê xwe bidim paş çiyayê qaf

Mirin ketiya çavên min
Bi xezebeke mezin
Rişmê li behrîbelek berdim
Û bi çiya û geliyan kevim
Di ser lat û zinaran re
Gur û wawîk
Şevreşk û cin
Veciniqin ji agirê ber lingên hespê min

Û ku hê jî kela min nerijiya
Ez ê bibim mihemedê seîd axa
Xwe berdim binê sînema amûdê
Sisê bi sisê
Çar bi çar
Zarokên kurdan hembêz bikim
Û dîsa vegerim
Yekî din
Yeke din xelas kim
Heta ku textên bin lingên min herin xwarê
Û ew bibe cara dawîn
Ez jî bişewitim tê de

Ez ê bi gelek peyvan evîna xwe nexş bikim
Dilê xwe pê ve bikelînim
Û bi xwîna xwe rengerengî bikim
Bînim diyarî te bikim

Ku dîsa evîna min bû leylan di binê wê tavê de
Û ji her du çavên sayî winda bû
Wê çaxê ez ê xwe cara bîst û nehan bikujim

Bila te hay ji evîna min hebe
Û zanibe ku ya evîna min dihelîne
Li ber çavên reşbelek winda dike
Ew tava ji kelkela dojeha mirovatiyê dertê ye

Meytê min avêtibûn binê pira diêmê
Xwîn kiribûn ava zemzemê
Piştî ebabetê vedixwarin
Hatim di vir re derketim
Wexta ku te got "hezkirin bi te re nemaye"
Bê nifir û bê fatihe
Emirqutî bûm
Mirim

Min dev ji nivîsandina pirtûkan berda
Ez ê qelemê di ser dil de cit bikim
Zarokê dayikeke bindest im
Peyv zû li min dikeve
Ma sê dem û nîv emir
Ne hindik e ji te re qera min

Ez serê xwe li kîjan kevirî xim
Kîjan risteyên bi ber çavên tîrêj neketine
Birêsim bi vê bêkêriya xwe
Helbest rezê xelkê ye
Ê min mêwek jî nîne

Ew çavên te
Ku çav lê diketim bedewî dibûm
Dev ji nage û lokê xwe berdida
Û êrîş dikirê li wê çola xwedê
Bi hêviya ku tîna xwe bişikênim

Wexta ku min fêm kir
Elî û welî xelîl û celîl e
Nema hewce kir ku herim
Ne dêrê ne mizgeftê

Ez ê bikim haho
Heta ku dengê min bi ser ezana melê
Û zengilê dêrê keve
Ez ê sîpanê xelatê xera bikim
Heyfa siyabend li erdê bimîne
Stenbol wê bide ser şopa sîpan

Çelqîna şîrê satilên te
Mizgîna biharê
Bereketa bêriyê bû
Kefa ser xilolîkên berfê

Ew peyv li min ketibû carekê
Wê şevê
Digel misilmaniya xwe
Min heft celeb mey
Du pakêt cixare
Çar pênûs
Du tomar kaxiz danîn ber xwe

Bi ser de jî
Deng û awazên mihemed şêxo

Min meya xwe vexwar
Cixare qedand
Pênûsê kaxiz alast
Şirîta "ay lê gulê"
Qulibî û hey qulibî
Jana min kêlîkekê serê xwe daneanî
Û raneza

Ez ê pênûsa xwe bişikênim
Kaxiza xwe biçirînim
Qerfa xwe binax bikim xortxapînokê
Bila ew dil dunig lê nexe
Amed bi bêbextiyê nehise

Ez destevala marne
Bê qerf

Ez ê serê sibehê rabim
Xwe girêdim
Solê di pê xim
Pêlên mirovan biqelêşim
Berî bidim mala kawa nemir
Li dêrî xim
Xwe bavêjm dexlê wî
Ji bo ku hest û jana min
Li ser baskên helbesta xwe bike
Û paşê bînim

Bifirînim
Bila bê xwe li ser dilê te dayne

Û ku hê jî tu ji min bawer nebûyî
Ez ê çavên te biterikînim
Bi ser de jî
Nema qala azadiyê bikim

Mêjiyê min kuçe bi kuçe direve
Ji ber himehima dilê min
Duh
Li ber lingê dayika xwe penaber bûm
Îro jî li vir
Ji ber ku li pey evînê digeriyam

De ka were canê
Çavxezalê
Bêje ku min ev peyv ji ber êşa dil
An ji ber tiştekî din got
Devê min xelitî
Ez ê têkevim baxçeyê her helbestvanî
Riya xwe bi ser ê aragon jî bixim
Heft reng kulîlk bidizim ji her du çavên te re

Carinan roj sar dimîne
Havîn dirikrike ji serma
Bihar qet nalîrîne
Bargiraniyek dikeve ser laşê mirov
Dil bedenê
Beden dil tehmûl nake

Ew satilên di zendên te de
Sîr tê de kef nade
Êdî tu ne bêrîvan î
Bêhna gul û gîhayên zozanan ji te nayê

Mirov ji azadiyê ditirse
Masî ji avê direve
Evîn bi naletê dikeve li van deran
Loma bi çolan dikevim diherim
Û qeys henekên xwe bi min dike

Divê ez xwe bi esmanê heştan ve daliqînim
Ên di binê heft esmanan de
Meytê min nebînin
Ku tu jî di binê wê tavê de bibî leylan
Û bêjî "hezkirin bi te re nemaye"

## PIŞTÎ ÇÛNA TE

Piştî çûna te
Bi ser sergoyên bajêr ketibûm
Dimeşiyam
Ewran hêsir dibarandin
Di nava şêniyên xewnan re
Kolan û kuçe dibihurîn
Porê te li serê her kuçeyê
Xwe berdida serçavên karxezalan
Bi xwe re dibirim wargehên jorîn

Mijek çêdibû ji bejn û bala te
Henûniyê xwe berdida ser
Û bi dûr diketin

Çûkên ser berfê
Li ber bayê zemanan
Li ser bermayiya evînê
Min û seqemê
Qala germiyanan dikirin ji hev re

Piştî çûna te
Gelek siwar ji hespên xwe xeyidîn
Gelek qop û kulek li dû karwanan man
Û reva min bi qasî dirêjbûna gulîkên te bû
Ew çend bi dûr diketim
Ew çend nêzîk û dîl dihatim
Piştî çûna te

## DESTÊ XWE VENEŞÊRE

Dest
Keştiya rêwîtiyê ye li ser riya mirovbûnê
Destê xwe veneşêre
Jin î tu
Ji çîna bêxwedan Keçika neteweya min
Ango kesereke sêserî
Pêşî dirêjî te dibûn dest
Di talankirina her welatî de

Di zik di dergûşê de
Li ser mirovahiyê bûn destên te
Dişûşt vedişûşt
Û dirêjî azadiyê kiribû
Di girmîna şeveke bêserî de
Destê xwe veneşêre

Bav bazirgan
Bira bira bazar xuya bû
Bej in beranberî xişîna peran
An ser bi ser
Bi ya xûşkeke din dihate guhertin

Li daweta dînan
Aqilê mirîşkekê heft caran belav dikirin
Cunet davêtin binê lingên dayikan
Dayik binê lingên bavan
Û silava rojane

Para dayikbûnê bû sixêfa yekem

Dibe ku dilketî du gotinên xweş
Diyarî çavên reşbelek nekiribe
Destê xwe veneşêre
Berav dide rûyên qesasan
Û ta digirim ez
Ku tenê dimîne yê min

Ger tu ax û adan bûya jî
Evîn tim diqewimî li dil
Di binê her xeyda belaseba de
Girê salan veşartî
Û jinbûn qet bi kêr nedihat
Yezdanê dilovan bi qasî pirtûkên xwe
Neteweyên pêşketî bi qasî şarezatiya xwe
Rêheval bi qasî adetên bav û kalan
Ji te bi dûr bûn
Destê xwe veneşêre

Zimanê şêrîn tunebû
Lê dinaliya dipeyivî êşa dest
Destek dirêjî welatekî bibûya
Êdî nema bisekiniya ew dest
Destê xwe veneşêre

Bila biçirûsin çavên te
Û lêv ji nûçeyên xêrê re bilivin

## MIN Ê BIGOTA

*Ji ho Aynar Artanê*
Ê min ne wek ê alemê ye
Gur û seyên har in hawîrdor
Xwedêgiravî min ê bigota
Bila roja me jî tarî nebe
Stêrkên me jî nexuricin

## NÎRÊ AZADIYÊ

Nîrê azadiyê, şevekê mêvanê min î
Pişta me li dîrokê
Rû li berriyê
Em ê şerava midyadê vexwin
Li kela mêrdînê

## TEYRÊN BÊHÊLÎN

Teyr hene
Çêlikên wan li rastê
Bi nikiJan laşê xwe dixurînin
Perik û kunn jê diweşin
Perçiqiye hêlîn
Yan xwe wisa dîtine
Ji pirça ku lê rabûye
Diyar e ku ne ji yên din in
Ew teyrên bêhêlîn in
Jar û xemsar in
Ne ku li genniyanan digerin
Ji ber birînên xwe koç dikin
Ji ser êşekê difirin
Li ser a din datînin
Û dîsa difirin ji ciyê ku kêlîka din lê danîbûn

Dieciqin di navbera esmên û erdkêşê de
Gava birçîbûn laşê wan giran dike
Nizm dibin ber ve axê
Li danînê kuliyekî bibînin bextê wan çê ye
Li benda yekî din bimînin digewixin

Nikarin du qirşikan bidin ser hev
Serê daran zindiyên bibask
Binê zinaran mar û keftar girtiye
Di ser welatan re baskan lê dipêçin
Bi xwe re digerînin çêlikan

Biyanî diqîrin

Dengê xwe
Rengê xwe
Biçûk dibînin tira baskên xwe
Ji hev hez nakin
Mêşek di navbera duduyan re difire
Bi hev dikevin dibin baz
Ku tebayekî din dirêjî wan dike
Pepûkin

Kêlika bihevşabûnê ava reş bi çavan de tê
Rê winda dikin
Sibehê roj
Êvaran şev li wan digere

Ku yekî bask li têlên zemên dikeve
Serê navxweyî ji bîr dikin
Kêfê lê diqewitînin teyr û teba
Yek nikilekî li sêrî dixe
Dipeke ber lingê yê ku bi teriyê digire
Û dîsa çeng dike
Di nava rimilkê de
Xwe rast dike baskê sax
Refê wî lê dinihêre ji dûr ve

Piştî vê mîhrîcana wekî her roj
Tevî bargiraniya jiyanê
Bilind dibin dîsa bi yekî kêm
Bêderbûna wan pê re

Diqulibin pişt behran

Ravgirtî li esmên
Spî dikin hebên birincê
Cit radibin heta ser ewr
Bask vekirî
Disekinin bêhnekê
Û bi xijîn xwe berdidin ser şiva keskesorê
Li nêzîk mîna ku henekên xwe pê bikin
Bi erdê re difirin
Û dîsa wekî berê
Berjor dibin bi teqlan

Xwêdan lê sar û sivik
Xwe berdidin ser reşayê avê vexwin
Bi nikilê pêşî re
Mirûzê xwe dibînin tê de
Vediciniqin vedikişin ji wir

Kefenê reş li ser bedena wan
Beriya wextê xwe tê şev
Û devên xwe vedikin newal û gelî
Zûrîn û wîqewîq
Xuşîn û terqîn
Bi zimezima bê re
Kêreke kalanî ye her xiştîn li zirêv
Bê serî digerin zindiyên xeybê

Melisî li ser xeta mirinê
Vedilîzin her ku qîrîn bi yekî dikeve

Li berqefkan
Li binê hezazan
Digerin serê sibehan li ser perikên hevalan
Ku duh vî çaxî henek bi hev dikirin

Bi ya wan be
Ku carekê firiyan û pê ve
Nema xwe daynin
Rûyê erdê rûyê mirinê ye
Bizanibûna ji kû tên
Wê bizanibûna bi kû de diçin
Polîpoşman difirin ku bigihîjin erşan
Tarî pêşberî li wan dike
Li vegerê xwe didin qeraxa avzêlan dimînin

Xêmexwaz e her reşê ji binê konê şevê derdikeve
Bi tasewas guh
Ji derdorê
Hêvî xumam digire ser şîlaqa çavên bihêsir
Emrê çûyî
Ev çend wext bû
Ji bîr bûbû çêkirina hêlînekê
Hêkên wan ber bê diçûn...
Çêlik ji yên din re mezin dibûn
Baskan digihandin devê mirinê
Ew ê li ser kîjan xewnê
Bi kû de biçûna
Ji nû ve diçin ser hev çav
Û bi wî hawî dilûsin li ser fikaran
Teyrên bêhêlîn têyrên bêhêvî ne

## XUNAV

Cara çendan bû şûv hiştibû dil
Bayê reş bi wê de nebiribû tu ewrên baranê
Li ser heyva rû
Hêsiran xwe digihandin îskeîskan
Keser li çardeh bû

Ma kê dizanibû êş çi qasî kûr e
Û xunav çawa tên xwarê
Gava ku çav xwe ewr girêdin
Du caran qala yek tiştî kiribûn jê re
Bextê wê û yê welatê wê

# LI BIN RÊKA KADIZÊ

*Ji bo Serwet Denlî û Nûra Hecî Elî*

Li bin rêka kadizê riya bevrîşim heye
Karwanê li navberê hay ji stêrkan hebe
Ew ê qet nexape
Li nêzîk li dûr
Başûr û deverên din digerin
Li ciyê ku şewq didin nînin

Bi ketina yekê re
Xwe davêjin paşila yezdanan karwan
Şîn digere li nêzîk
A way stêrkek xuricî dibêjin li deverên dûr
A kê ye gelo

Kezeba xelkê mirina dayikekê
Ew ê çi bike ji kadizê
Ka dizîbe ji mala bavê
Li ber siya zemên
Du gor bang li hev bikin
Li wan vedigere deng
Melhema kezebê nîne

Li jêr li bin rêka kadizê
Riya hevrîşim heye
Balindeyên ji ber karwanan difirin
Ber ve esmanan bilind dibin
Cî nakevê xwe lê daynin
Tên li stêrka xwe asê dibin

Li nava karwanên biyanî
Ku bi mij û dûmanê re dimeşin
Teyrên bêhêlîn zû tên gewixandin
Beriya ku bixuricin
Bikevin ber lingên karwên
Sewq didin stêrk
Û rêka kadizê li ya hevrîşim dinihêre

## NA

Vê sibehê ji mêj ve
Mizgîniya nayekê gihiştiye min
Nayeke yekser
Ku yek jê şevek nîvê şevê
Di deşteke welatê min re dibihure
Ez pê dihisim
Ji ber ku na ye

Na
Yek mirinekê dike
Ya din jiyanekê
Gava ku hat û te naya xwe kişand
Ew ê ji her duyan li yekê rast were
Lê ku çong li te sist bûn tu ricifiyî
Heta emrê te hebe
Tu yê stûxwar bigerî li nava erêyan erênayan

# YİLDİZ ÇAKAR

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1978ê de li Amedê hatiye dinyayê. Dibistana seretayî, navîn û lîse li Amed û Mêrsînê qedand. Di sala 1996ê de dest bi rojnamegeriyê kir. Di Ulkede Gundem, Azadiya Welat û Ajansa Nucayan ya Dicleyê de karê rojnamegeri û edîtoriyê kir.
Nivîs û helbestên Rojda di gelek kovar û malperan de hatin weşandin.Dîwana wê ya yekemîn 'Goristana Stêrkan' Weşanxaneya Sî (2004) çap kir. Çaqar piştî çapkirina berhema xwe ya bi navê 'Goristana Starka' ji ser rêça helbestê dageriya,berê xwe û pênûsê xwe da çiyayên çîrokê.
Heta niha li tevî nivîsên pexşanî bi qasî 50 helbest û pexşênên Çaqar weşiyane. Hinek ji van di pirtûka 'Goristana Stêrkan' de hinek ji van jî di malper û kovaran de derçûne.
Rojda Çaqar li Amedê li gel hevserê xwe û roniya çavê xwe,-li gorî wê wateya jiyanê,Dicle-dijî

**Berhem:**
Goristana Stêrkan,Weşanên Sî,2003

## KERBA DİLEKÎ WİNDA

-şewgora sibehekî hatibûm windakirin.
Niha bihare!
Biharekê bêwext.
Û bi diayê windayekî car din, ji bo te têm afirandin.

Niha adar e, adar
Dar gul e, dil bi kul
De were yar de were

-niha ez bûme pinpinîk û tu kulîlk!
Çima cihê me di nava demsalekî de gûherî.
Ka, ez ê bibûyama kulîlk û tu yî pinpinîk.
Çima cihê me di nava qederekê de guherî.

Niha adar e, adar.
Gul e dar / kul e dil bi yar.
Carek bê serdana min,
Silavek, bi maçek
Bide bide bîrîna dilê min.

-te ji bo emrê xwe yê hefteyekê, êşa demsalekê da min.
Niha nizanim li kîjan demsalê û li kîjan biharê em ê
-di xewnan de-
Rastî hev bên.

Hay ji xwe hebe.
Adar bi dawî dibe / gul bi avî

Qemika êvarê dil berdide te
Û ez bi diayên windayan rawestgehekê digerim,
Ji bo xwe û ji bo te.

-niha bi xwe re dipeyivim, bi dilê xwe re.
Li ser qada awêneya şkestî distirêm.
Li ser te kilamek dibêjim.
Tê de zilm û zora te.
Wek şîzofrenekê!
Yek ez, yek tu û yek jî windayên adara bi xwîn.
Di dîasporaya evîneke neçar de.
Ne pinpinîk bû xwediyê kulîlk, ne kulîlk bû pinpinîk.
Tanq û topa adarê bû qedera kulîlk û pinpinîka biharê.

-westiyam.
Dixwazim bigrîm.
Barên bijangên min bila werin xwarê.

Adar çû / gul ma bi tenê.
Ne havîn gihaşt zivistanê
Ne zivistan li havînê.
Bekoewanek bi navê biharê
Kenek bi girî hişt ji bo
Pinpinîk û kulîlka dil ya adarê.

-adar jî çû ez mam tenê!
Ne windayên biharê vegeriyan malên xwe,
Ne jî gorên wan hatin dîtin.
Destmalên bi xwîn ya di paxilên porsoran de man

diyarî.
Kî çîrokên me dinivîse û kî qedera me.
Çima ez dibim kulîlk û tu jî pinpinîk?

Adar çû / gul ma sêwî
Havîn hat/ zivistan bû xeyalî.
Dil dîn û har bû û da dû yekî
Şopên winda jî xwe avêt bextê berfê.

-temenek!
Tenê bûm xwediyê gorek.
Û laşê min ber bayê dîn ket.
Wek adarê xeyalên min jî ez terk kirim.
Bîranînên min di gola xwînê de.
Hîn distirêm.
Ji bo tixûbên çavên te.

Adar çû / gul ma tiq û tazî
Zivistan li ser dara wê danî.

-de çi bibêjim.
Niha bi xatirê te!
Ger ku car din bêm dinê û car din li te mikur bêm,
Wek zivistan û wek havînê,
Wek siyek,
Li du xeyalek
Ezê bibim gul
Û tu jî
Bilbilek…
Ji bo kerba dilek.

## GOG

Ez goga li ser kevir bûm
Kî derbasî rêzika sereka bû
Lagên xwe bi ser min de anî
Ne kes guneh bi min anî,
Ne jî destê xwe dan min bi dostanî

Ez kevirbûm min anîn zimên
Ne bûm çîrok û ne jî roman
Bûm leystoka gûndî û bajariyan
Gindir bûm navbera wan

Di leystokê de deh yezdan
Kincên reş li wan her yekan
Sê kêm heft şev û rojhêyvek
Xwe berdan nava şêrwelatek
Agir li mala herkesi ket
Hewar li dergûşên ber şîr ket

Ne gog ma ser kevir û ne jî
Kevir ma ser kevir
Ne rehm bi guneh ve hat û ne jî dest bi dostaniyê ve

"ez miriyeke bê nav im,
Ne navnişana min heye û ne jî rawestgehekî min
Wek gogê li aluleyên goristanan têm
Êdî qiyma xwe naynim
Ez gogek winda me,

Hatiye firotin axa ser ruyê bapirê min"

Ez goga ser kevir im
Bê rumet û bê welat im
Di nav koran de, rastiyek bi çav im
Êdî bese
Canê min ne êşîne
Navê min dîroke, dîroka hebûna te
Ji devla serê min serê xwe bixwe

# FATMA SAVCİ

## JÎNENÎGARÎ

Sala 1974ê li gundê Girê Mîra ku girêdayê Nisêbînê ye hatiye dinyayê. Lê ew bi eslê xwe ji gundê Hêştreka bi ser Midyadê ve ye. Dibistana seretayî li Girê Mîra xwend. Di wan salan de, qedexeya ku li ser zimên, bi gotina wê 'ew zû mezin kir' û ew zû bi perkan xist.Fatma Xan weha didomîne:

Wext hatibû ku êdî dilê min xwe vebêje. Lê dilê min, tirkiya ku bi kotekî bi min dihat fêrkirin nediheband.Digel wê ya fêrî kurdiya qedexe jî nebûbûm. Min çavên xwe digerand ji bo ku peyvên veşarî yên kurdî fêr bibim:çiyê çav li min dişikand. Min jî xwe li banga çiyê girt. Demek wisa germ û bêderfet bû, ne lênuskek min hebû, ne jî pênûsek hebû di destê min de. Bi alîkariya hevalekê ku qet rûyê dibistanê nedîbû, û ew jî bi çiya ketibû, li ser berfê ew tîpên nepenî nîşanî min da:ê,w,q,w,û… Bîra berfê dikarîbû nebe; lê min ew tîp di hiş û binhişê xwe de kolan… Di sala 1992an de, bo bizav û çalakiyên siyasî hatim girtin. Di dadgehê de ji bo ku min parastina siyasî bi zimanê xwe yî kurdî kir, min guneh/bar/tawan/sûcê xwe(!) girantir kir li cem desthilatdaran.Di encama dadgehkirinê de dadgerên dadwer(!)panzdeh sal li bejna min î kurt, birrîn. Di

demên dîlitiya xwe de li heşt girtîgehên Tirkiyê û ên li Kurdistanê hatim gerandin. Li pişt bêjimar deriyên hesin û dîwarên kor ên heşt zîndanan jiyam. Min çîrokên keç û kurên heşt girtîgehan dan hev. Di sala 2003yan de, bi dîwaneke helbestan ku min li ser pelên cixarê nivîsîbûn-da bikaribim veşêrim-, derketim der.

Helbestên min, di kovara Jiyana Rewşen, rojnameya Welat-Azadiya Welat, Kovara W, Tîroj, Peyv, Hîwa û pêveka rojnameya Ozgur Gundemê de belav bûn.
Niha jiyana xwe li bajarê Stembolê didomînim.'

**Berhem:**
Gulên Qasid, Weşanên Avesta, 2006

## BİRCAN Lİ BER XWE BİGRİM

Bi Şevê,
li ber lempeyê malên Mêrdînê,
bahozek dest xedar
ez bi xwîna birayan şûştim...

û kevira
di neqrikê neqşan de
veşartim ez...

Stêrika,
bi qelema xenîma
giriyê xezalan xêz kirin
li zeniya min...

û xwedayê kendela
ji berê de,
li eniya min nivîsîbûn
ku ezê rojekê
bircan li ber xwe bigrim
û li deşta qoserê
bi simbilê genima re
ya ezê xwe ji serî heya binî
bi şewitînim
yan jî ezê xwe bi,
kûlîlkê nîsanê re
her dan biwelidînim...

# Lİ BENDA NOFÊ QULİNGAN MAM

Keçika ji qewmê çivîkan!
dê bi levdana baskên te
dojeh biwestin,
bi tazîbûna zimanê te,
rûpûş bi tevahî biweşin...

Dixwazim bizanim,
kîjan demsal
dê kulîlkan vekin
li birînên te?

Li kîjan qonaxa zemên,
dê ferîşte bûhiştên mê
bikin mêvanên serxweşiyên te?

Neha, li dilê kîjan çiyayî
veşartî ye tovê kenê te?

çavên min bûn kanî
li rêyên ezmanan,
min,
zerka çavên stêran dizî.
li benda nofê qulingan mam.

lê çi bikim,
bêyî bilûra Evdalê Zeynikê bûm ez.
û wan nalînên min

ên ji dengê rûbaran jî nebihîstin.

dizanim,
Hecîreşkan ji zû ve ye,
çavreşî kirin bajar,

hêwanên qesrên kevnar,
şaneşînên bi darên mêwan
xemilandî...

lorîkên ber dergûşên
ji darê biyê jî
terikîn...

li midyadê mehserên tirî zuha bûn,
hew kes ava gulan jî vedixwe...

Lê ma tu zanî
Şahmeran jî hew tê civanê
tu kesan...

îcar neha,
li kîjan kendalî
dihewin Hecîreşk nizanim.

min divî bizanim,
boyî çi ji sêncên helbestên me
koçber bûn: ew çûkên ku nîvî em bûn
hêvî bûn,
di xewnê de firîneke xweş,

di hişyariya me de
ew bask dîsa bi me ve bûn...

Belkî çavtirsandî bûn
ji demsalên ku ne yê kuncî û pirpirîkan
ne jî yê bih û çivîkan bûn?...

Tu bi qedrê qûmriyan kê
Bêje Hecîreşkan
bila vegerin careke din

Eger ku dibêjin illahî KENDAL
ma qey wê li kû bibînin
kendalek ji evîna me
mezintir...

Û demsalek germtir
ji hêlîna dilên me?...

## MİRAD DİXEMİLANDİN

Îro li Sîpanê
xezaleke çiya dît min.

Li keviya dilê wê
Siyabendekî xemgîn pal dabû.

Devê tîra xwe kuh dikir.
Ji devê Qulingên birîndar
gotinên Evdêl kom dikirin
li lênûskeke rû spî...

Êlên giran
konê mezin vedidan
li lûtkeyên çiyê
li zozanan...

Zeriyên koçeran
ji dêvla neynikên neqişandî
li ber çavên Behra Wanê
dihûnandin keziyên xwe.

Zeynikê rûdinişt
li ber çokên bûkan
di destan de kilê siphanî,
û xwîna hemî gulan,
miradên gerden spî
Dixemilandin...

Xecekê jî
li bin darên spîndaran
ristikên xwe yên ji morîkên kehrîbar
girêdida,
li gerdena karxezalekê.

da ku bibe barana evîndaran
didan hev rondikên xwe
ji ser rûyê Siyabendekî...

Û ji bo hew bikujin hezkiriyan
radihişte dilê xwe
davêt valahiya kendalekî...

## DİLOP

Şaneşîna havînê ji Hechecîkan re
zeman di şikeftan de yê rojîna,
destên zilmê li ser şeveqan bûn
û dîsa stûyê Kurdistan
li ber devê kêra bû,
dema dilop dilop
tu niqutî
sarinca dilê min.

Çav ji bo girî
bejnên rihanî ji agir re
bûkên xemilandî yên şahê çiya
stran li ber şewatan bûn
gava tû mîna çil kaniyê Dêrsimê
herikî nav çîroka min...

Min divî tu dîsa
careke dî
bi bayê bakur re,
di êvarek zozanî de,
bi dengê bilûrê re,
di nav strana dengbêjekî serhedî de,
bi berxikan re
vegeriyaba
şevîna min...

## CÊWÎ

Min ji keviya rojê
tu dayî hev.

ji qalçîçekê nava xewnan!

ji baskê weşiyayî
yên çûkên berfê.

min tu
ji êşa birîna,

ji kûr kûra girî
û ji germiya besimînên xwe
tu dayî hev.

Ez geliyekî tenha
tu avek bê pêjin bûyî
li paşila min...

stranekbum ez
tu jî awaza wêyî dilovan.

Ez Kurdistanek li newala qesaba,
tu Agîdê wê bu yî cêwîkê min...

# BÊRÎ BİHAR

## JÎNENÎGARÎ

Bêrî Bihar,ji Batmanê/Elîhê ye.Li gor gotina wê; di 12 saliya xwe de bûye helbestkar.

Û mikur têt,ku herî zêde di bin bandora Cegerxwîn de maye.

Li Zanîngeha Gazi xwendiye,lê beşa ku qedandiye di jînenîgariya we ya di pirtuk û malpera wê bi xwe de ne diyar e.Ji nava rêz û hevokên wê em tê digihijin ku Bêrî demekê li welêt mamostetî kiriye. Ji bilî helbestê,çîrokê jî dinivîse,lê çîrokên wê weke pirtuk hêj çap û belav nebûne.

Bêrî, ne li erd ne li ezman;di navbera Holanda û Kurdistan de dijî.

**Berhem:**

Qeşem,Weşanên Sî,2002

Buwariya Hestên Lerizî,Weşanên Avagon,2005

## QEŞEM

Dilê min wek kûlîlkên qeşadayî,
Li ber şikestinê ye.
Taveheyva çavên te de xûya ye belek,
Pêşeroja xweza ,
Yên bihara rengîn.
Dûrî
Dûrî dûr e…

Kûlîlka li ber bişkivtinê me,
Bi hêviya evîna dijwar.

Dilê min teng e,
Tengahî teng e…

Gûl û gûlçînên min ji bîr kirin roj.
Di şahiyên çavên te de,
Bihar di kene bi tiketik e,

De were!
Êdi were!
Tevî çûkên li hêlînan geriyayî,
Bi bayê xwe re bîne,
Bihara kûlîlkên qeşadayî…

## XEW LÊ HERİMÎ

Dîsa şev di nava xwe de qehirî.
Xewa şevê lê herimî…

Ewrên bar(an) giran,
Ji şevê reştir,
Bi ser de digirî,
Lehiya hesiran diherike hêdî hêdî,
Wek biçe diziya feqîran,
Li kolanên bêxwedî,
Hêdî hêdî dilivînin sivêrnekên puş…

Xewherimî,
Dijwarî,
Di dil de dilîze,
Heman şanoyên wateşûr,
Qetla gumanan dike ,
Bi peyv û hevokan…

Her tişt bi ser de tê,
Dibe qûbik.
Girek bilind, ser sipî.

Heman xerabî cihên xwe dizanin,
Şevreşî,  Xewherimî,
Xerîbî,
Û…
Di nav germahiya hilmek tînnas,

Li nik te dirêj,
Destên xwe dirêj bikî,  wê maçî bike.
Hilma evîneke,
Hurik,
Wek kulilkeke hespa,
Herî sipî,çavbelek,
Ew e, maniya li dûrî mayîn,
Ku te,
Bê welat diegilîne,
Siya hilmek germ e,
Te li durîtiyê bi şîr û hûngiv,
Xwedî dike…

## HÊVÎ CEJN E

Cotek şekalên nû,
Di binê balîfa min de,
Destê min di paxila diya min de .
Min çavên xwe bi lez girtin,
Ji bo bi lez sibe bibe…
Sibehê cejn e!..
Du roj heya nîvro rojî bûm,
Diya min ew dirût, bû rojek.

Di tûrê min de hêviyên gelek ,
Reng bi reng şekirên cejnê.
Her reng hêviyek…
Dilbiçûk, hêvî mezin bû zaroktiya min.
Kê ji min girt nizanim.
Nayê bîra min…

## PEJNÊN MİN

Pejnên min,
Dialêsin tenêtiya payîzan,
Difûrin li ser bedewiyên biharan.
Wek hestên sêwiyan,
Ew jî têkçûn, ber bi xewnên kûr û dûr ve.
Wek hestên keçeke sêwî,
Ramanên serjêkirî, bê ol û îman.
Ku heman deman çewterêye xazên wan,
Kes nizane li kû derê dilîsîn?
Li ku derê ne hêlînên wan,
Nezî erd in an jî esman…

## ÇAVÊN TE

Çavên te;
Weke şembelîlikên bi sivêrnekên malsêwiyan ve kişiyayî,
Ji dûr ve diçirûsin, dibirûsîn.
Ji nêz ve qerisî û efsirîner.
Ji dur ve deryaşîneke di avagon de,
Ji nêz ve tariyek abadîn, bêbinî.
Di binê siyên mijangan de,
Ji dûr ve nagihan e, hêzanepenî,
Ji nêz ve sotîner, şewatek û xezebveşartî,
Nêrînên min qefaltin, girtin, fetisandin.

Çirûsên çavên te weke çûkên nûgihayî,
Ji dur ve şoxûşeng, şahbaz,
Ji nêz ve ji hêlînê firiyayî, nexwiyayî.
Bi çûkan re digirin senfoniya çawalêhato.
Çavdêrên çavên te ne çavên min,
Dieliqin dimînin bi govengeriya mijangên te ve girêdayî,
Çûkeçûka çûkan û çirisçirisên çavên te,
Ji dûr ve û ji nêz ve,
Kêf kêfa weye…

## KÎ HEBÛ

Kes tune bû,
Binivîse pirtûka me.
Em bi tevahiya jiyana xwe,
Li benda destekî bûn,
Ku porên me miz de.
Di bin lihêfekê de
Deh pê û penc serî.
Tiştê me germ dikir,
Xuşk û biratiya me.

Li benda çîrokekê man,
Di heman jiyana xwe de,
Kesî ne got ji me re,
Em nebirin xewnên rengîn.

Tune bû kes,
Ku pirtûka me binivise.

Me kaxizek nebû,
Fêrdarî nebûn em,
Nivisandina pêş û paşiyên xwe.

Tev daxwaziyên jinan,
Bi peşkên baranan ve zîz bûn.
Darikan ne zarok da wan,
Ne wan ji hêwiyên wan veqetandin.
Ne yarên mêrên wan li ber çavan reşkir,

Ne jî xesuyên wan dev ji navcîtiyê berdan..
Hêviyên me wek paçên kevnar,
Bi darikên ziyaretan ve petiyan.
Me tû caran,
Bi dengekî bilind,
Bi neşmî,neqîriyan stranên xwe.
Bê mirad koç bûn,
Dengên bi şewat û ciwan…
Her ku me dîroka xwe,
Bi gotinên xefî,
Ji gûh radigihande gûh,
Ku di mejiyan de dibû,
Pirtûk,
Şanoyên xwedî Nobel,
Û
Pê dineqişand jiyana xwe.
Me ji bîr kir xwe,  Di nava rûpel û şanoyan de.
Wê demê
Dihate çirandin,
Hûrik hûrik,
Wek kaxizan jiyanên me…

## JÎ KÛ HEYA KÛ

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye
Bûye lûsa rawil û sewalan,
Ji fêkiyên nêrît û janên me,
Ji hêvî û ramanên me doşekên sitûr girêdane
Li ser wan mar û dûvpişkan pal dane,
Dûyê qelûnên wan bûne ewrên reşgiran li ser baxên me.
Li benda barîna herî bi xişm me teyroka wan î xezeban.

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye
Ji peşkên barana şerê azadîxwaziya me,
Pêlên dijwar yên neyartiyê dizên,
Ji ava zelal vedixwin dostên me!!!
Ew xwarinxurên demekî sifra me ya dewlemendiyê
Şaredariya xwe avakirine li ser qûlpikên têrxwarinê.

Ka binihêre !
Tu nas dikî?
Ev rê rêya me bû
Rêya min û te,
Bûye korç û newal,
Di yek ji wan korçan de veşartî me ez,
Bûne delavokên hûrik di korçan de hestên me,

Weke sêwîstêrkan li hev civiyane.
Dilerizin...

Çawa be jî, ev rê rêya me bû,
Xirab be jî ezê wê biparêz
Bi xwezaya xwe ya jinantiyê.
Çawa be jî ked û xwêdana me rijiyayê.
Bixwazî dîsa were, hewl bide û bimeşe,
Ezê nas bikim pêlkirina te,
Nas bikim ezê,
  Rêçên te yên nermik
    Li ser çavên xwe...

# GULÎZER

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1979ê de li li gundê Eliparê li Diyarbekirê ji dayik bûye. Piştî mekteba seretayî û navîn dest bi Saxlik Meslek Lîsesî(Lîseya Tendûristiyê) kir.Bi dû kuta kirina dibîstanê de Gulîzer li gundekî bajarê Mûşê dest bi karê Ebetiyê(Pîriktî) dike. Di wan salan de di ezmûnê de bi ser dikeve û li Zanîngeha Dicle dest xwendina Beşa Zimanê İngilîzî dike. Piştî qedandina Zankoyê ,dev ji karê Ebetiyê berdide,Mamostayê Zimanê Îngîlîzî dike.

"Keziyên Jinebî" dîwana Gulîzer ya yekemîn e.Dîwan ji hêla Weşanxaneya Avesta,sala 2006ê li jêr rêzenavê 'şahmeran' çap bû.

Gulîzer dibêje, 'Mêla min a ji bo helbestê ji zarokatiya min de dest pê dike. Ji ber ku bavê min her tim ji min re helbest dixwendin, ji wê behra bi sêr zû haydar bûm. Hinek hêmayên wî, dinya min a hundirîn xwedî kir. Di mektebê de min bi zimanê Tirkî dinivîsî. Piştî evîneke têkçûyî ku berî deh salan rûda- li kurdî wegeriyam.Ev ne biryarek bû; bêhemdî min pênûsa min xwe li kurdî girt. Ji ber ku mirov bi çend zimanan bizanibe jî, her tim bi zimanê dêya xwe digrî.'

Li ser pirsa çiyitî û neçiyitiya helbestê bersiva gulîzer ev e:

Di jiyanê de jî berketiyê peyvan im, pala xwe pirr dispêrim wan, xwe pirr davêjim bextê wan. Têkiliya min û pênûsê xurt e. Di her kêlîka jiyana min de defterek li ber serê birînên min heye. Ji îro pêve, ez ê çiqas pêş kevim nizanim. Destpêkirin çawa ne biryara min bû, devjêberdan jî wê ne biryara min be.Ez xwe wek keseke sêyemîn dibînim di nav hest û di nav kaxizê de. Helbest weke marekî ku ji hulma min, ji dengê dilê min xwe xwedî dike. Her ku lê hay dibim vediciniqim. Lê ew jehra wî ji helbestên min re dibe hubr. Ez jî di nav vê jiyana bêwate de wan helbestan didim ber dilê xwe. Yanî ez û helbestê hevdu xwedî dikin. Di nav me de (helbest û Gûlîzer de.A.A.)têkiliyeke wek mar bi jahr, wek mar kevn, wek mar bi tirs heye. Wekî din ez ê tu car nikaribim naveke din li helbestê bikim. Lê ew hest wek evîndarekî serserî bêxeber her tim bi bayê bezê tên û xwe li siya dilê min digirin. Bêhna xwe berdidin , piştî ku diçin li dû xwe şopek dihêlin; ew jî hubr e. Belkî jî hubra ji bo helbestê dirije, wek keçaniya keçekê ye; ji ber ku tu helbest careke din nayê nivîsandin.

**Berhem:**

Keziyên Jinebî,Weşanên Avesta,2006

## DUA

Min bi heft zimanan
Ji heft jinên di tengasiya zayînê de
Dua berhev kirin
Ji bo hatina te
Nizanim Xwedê bi kîja zimanî dizane?

## PORKURÊ

Porê min ê tî
Diqurufe hêdî hêdî
Diricife
Berî ku satilcanî nebûye
Were
Aniha wê ji hesretan bibe sosret

Xwezî
Xwezî min carek din jî
Keziyên xwe bi barana tiliyên te av bidana

Xewnên porê min
Li ser balîfa şevê
Ta digrin her şev
Dikevin tatêla nehatina te
Bê netewe
Bê nasname dimînin her şev
Diheyirim
Wan çawa bihewînim
Bi kîjan bayê ve girêdim
Bi kîjan bengulîkê bi rê kim

Xwezî
Xwezî careke din jî
Te serê xew(n)ê daniya ser guliyên min

Dema ku têlên porên birîndar
Kul û keserên xwe
Ji tiliyên te re vedikir
Şûrekî fermî
Ew kêlikên xwedayî diherimand
Çilçaviyên keziyên min
Bi girî ve dikir

Tiliyên te yên hunermend
Di nav bihara porê min de
Serjêkirî diman

Porê min dibû dareke ji darên qebhetan
Deh seriyên jêkirî
Pê ve daleqandî
Derî bi derî digerandin ji bo şîretan

Çil roj piştî şînê
Dîsa qêrîn bi dengê wî yê bêar diket
Were

Were
Xweziyan
Bineqîne ji nav keziyan

Were
Li ser hespekî hêç
Bayê li dû xwe bihêle

Were
Por bike qada reqsê
Li ser govendê bigerîne

Were
Tiliyên xwe bike şûrên Şamê
Porê min têl bi têl talan bike

Were
Bila porkura vî bajarî ez bim

Were

## DİYARÊ BAKÎRE

*What is done can not be undone*
*Shakespare*

Her kuçeyek te bûbû Golgotha ji min re
Ewqas pîroz ewqas dirinde
Hesirên min qefle bi qefle
Çavên min bîhn çikyayî digihîştin ser meytên xwe.
Min, ji notayên nalînên te,
Lorîk rêz dikirin ji zarokên berşîr re
Min jî destmal nedinexşandin ji destgirtiyê xwe re.
Ez Natorên xirbeyên te,
Nobedarê hubriya te
Qurbana neynuka te ya heram bûm
Destê min ji te nedibû
Te rojek destê xwe di serê min neda
û tu hîna wê kembera reş ya ku serî mîna mar in
Dijdînî li pişta xwe.
Ez jî dahwa keçbûna jiyana xwe ya ku te bê qelend ji min stendiye dikim
Tu hîn dawa çi dikî
Ey diyarê bakîre
Ey Diyarbekir

# NAN

Gava tu bi ser evîna min de reş nedibûyî
Û ecra tenêtiyê li min dibuhurî
Ez pê dihesiyam ku
Tu diçûyî
Wek keştiyên sînga bahrê diçirînin
Û tu şop li pey xwe nahêlin

Li keviyan
Min ba dikir, li dû te
Xela ye tunebûna te
Hebûna te pariyeke nan
Ku carek din te bibînim
Ez ê sê caran maçî bikim bidim eniya xwe
Ku te nebînim
Ez ê dilê xwe
Ji xwe re bikim pariyeke nan

# HÎV

(Hîv bi kirasê xwe yê birqok
wek diya heft lawan
rûniştiye li şevbêrka stêrkan)

Ez tu car nebûm hîva şevên te
Nebûm endamê orkestraya kenên te
Çi bikim
Tu biguvêşî jî
Dilopek ronahiya hîvê Nanisile
Ji dilekî reşik

## HEFTOKA ŞÎNÊ

**(NA)sname**
Yekî tenikî dirêj bû
Çavên wî reş

**(NA)vnîşan**
Çû

**(NA)htorên wî**
Me nizanibû
Kîjan stêrk bêriyên wî guhdarî kirin
Kîjan xweliya xwelîser ew veşart

**(NA)lenala me**
Me nizanibû
Me ji dûr ve stranek dikir sebrik
Di ber dilê xwe di da
"min bihîstî tu nexweş e
çi bikim bextê me tim reş e"
Kenên me yên zaroktiyê hîn şînî ne
Lîstikên me stûxwar
Gurên çiyan teyrên ezman bûn hevalên me
Bêdengiyê, te guhên me xwar

**(NA)me**
Ku tu bihata, bi çi halî
Min ê çokên xwe ji te re bikra balîf
Min ê birînên te bi hêsirên xwe bişuşta

Min ê bi bijangên xwe kêl biavête birînê te
Min ê tu bi porê xwe bipêça
Û li ser te heft rojan biloranda
"lo lo pismamo çima tu deng nakî
serê xwe carek bilind ranakî"
Ez û çend biharên rengîn bi pey te biketana
Kuçe bi kuçe ji xatir xwestina te re bilîrandana
Heta barana çaven me can bidana

**(NA)kokî**
Çend dilop şîrê diya min
Ji çemê hêza Antîgone bû
Qaşo min jî jê vexwaribû
Malwêran im ez negîham te
Nebûm Antîgonaya te

**(NA)yêgotin**
Çûyîna wî
Car carna dibe îskeîsk
Lê nayê gotin

## HAZİRİYA TE

Bi ezmana dikevim herroj
Hiriya bi ser hev de bûye kulav şiv dikim
Ji bo raja tu werî
Û pal bidî li ser
Ez ê fîncaneke qehwê bidim destê te
Tu yê qehwê ji bîr bikî
Destê min vexwî

## ÇEND TA Jİ KEZİYÊN JİNEBÎ

Di paşila xwe ya kavil de bêriyên naşî
Bi sebrikan xwedî dikir
Bi bendemayînan kedî di kir

Serê pêsîrên wê tim bi hinne bûn
Amadebûn ji her dawetê re

Roj, êvarekê di nav herdu pêsîrên wê de çûbû ava
Bi dû kurtêlên tîrêjan diket,
Ji bo roj hilê di paxila wê de
Xwe dispart darên ziyaretan
Çend ta ji keziyên jinebî
Kir hêvî û girêda
Li şaxek dara ziyaretê

## ÇÎ BÛ ÇÎ NEBÛ

0
Li atmosfera dilê min
Ji sedî bîst û yek bû

1
Payizeke bi hukum bû
Pelên zer hîşt ji bo donzde me han
Her pelek bû pêlek har
Ameda Parîsa dilê min
Bû payiza emrê min

2
Agirekî dêmanî bû, ne koçerî
Wextê min li stranan guhdarî dikir
*'And you don't know*
*how I wish you were here'*
Ne dibû sebrik
Sewatên niştecîh bi bayên biyanî hênik nedibûn
*'Xirabo weleh tu xirabî bileh tu xirabî*
*bi sonda mele û şêxan tu xirab î*
*te çawa kir terha min keçikê, min kevokê ...'*

3
Wek kirasekî heram bû
Ez jî kevanî
Min evîna wî sê caran bi xweliya sor dişuşt
Hîna bi ser xwe de dikir

4
Zarokekî lalûte bû
Sê zimanan xwe daliqand li vî bajarî
Her tîpekê stêrkek dikir ruhstînê xwe
Ferheng dihatin şewitandin li ser bircan
Evîneke bêpeyv û bêdeng bû
Û du pandomîmên hêja afirand ji me

5
Evîna wî ji nexweşiya hemofîlî bû
Wextê ku brîna dil der dibû
Êdî xwîn nedisekinî
Bi dermanan

6
Bextewariya me wek otobozên şîn bûn
Ên ku di ber mala me re derbas dibûn
Em her tim bi du gavan dereng diman

7
Evin azmûnek bû
Sê xeletî dibûn qelendê rastiyekê
Ew bersiva rast bû
Dibû berdêliya xeletiyê

8
Ji xeletiyên xwedawendan yek jî
Evina me ye
Bi nezanî
Ruhek bera du laşan da ne

Heta li xwe hay bibin û lêborinê bixwazin
Em ê weha nivco bigerin
Bêyi hev

9
Evîn dareke tûyê ya reş bû ji daran
Li hewşa mala me bû
Ne li der û doran
Em li dûr li hev digeriyan
Me hevdu nedidît wek koran

## BERDÊLÎ

Ne qelend dixwazim ne jî xelat
Em ê dilê xwe berdêlî bikin
Sibê
Nava rojê
Li ber çemê Dîcleyê

## BÊJÎ

Ev herdu çavên min ên derxistinê ne
Cotek xar in ji qewmê Oîdîpûs
Wê di biharên gunehkar de
Li hewşa mizgeftekê
Li xwe hay bibin
Bêxwedî, tazî
Teqez zanim
Wê werin xwe bikin berbayên çavên te
An na wê bibin du sixêf li rûyê min
Berê wan tim li jiyanê

## HASAN KAYA

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1964ê li Nisêbîna navçeya Mêrdînê ji dayik bû. Seretayî û Amadekarî li Nisêbînê xwend. Piştî xwendina du salan (1982-1984) li Unîversîteya Anatoliya Beşa İqtisadê,derbasî Zanîngeha Dîcle Fakulteya Perwerdeyê Beşa Wêje û Zimanê Tirkî bû.Xwendina xwe di sala 1988ê de qedand.

Bi dû kutakirina xwendinê de li Adiyaman/Semsûrê, mamostetî kir.Di van du salan de Kaya bi tewana kurdparêzî ango cûdaxwaziyê hate darizandin..Bi dû vê bûyerê de ji herêma awerta hate derxistin û sirgonî bajarê Yozgatê bû.Ji ber ku çûyîna Yozxatê red kir jiyana Hasan Kaya ya mamostetiyê li wir qediya.

Kaya, piştî ku dev ji mamostetiyê berda, ket nav xebata kovara “ Yurtsever Emekçiler” (Kedkarên Welatparêz) û Sendikayên Mamoste û Kedkaran. Dawiya 1992yan, di damezrandina NÇM (Navenda Çanda Mezopotamya) Şaxê Edeneyê de cih girt. Sê salan serokatiya vê şaxê kir. Piştî xebata damezrandina NÇM Şaxê Mersînê,sala 1996an di kongreya 5. ya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê de, wekî Cîgirê Serokê Enstîtuya Kurdî hate hilbijartin. Di sala 1997an bû Serokê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê.Hasan Kaya heta

serê sala 2003ê Serokê vê Enstîtuyê ma.

Di van salên Seroketiya Enstîtuyê de Qayaji bilî Serokatiya Enstîtuyê Edîtoriya Kovara Zend, endametiya lijneya Kovara Jiyana Rewşen'ê jî kir. Di kovar û rojnameyên cihê de -bi piranî bi kurdî, kêm caran jî bi tirkî- çîrok, helbest, gotarên edebî û çandî nivîsî;di projeya çêkirina Ferhenga tirkî-kûrdî de wekî redaktor û endamê lijneya şêwrê, beşdarî xebata ferhengê bû.

Kaya,niha li Amadê dijî,Nûnerê Navenda Pena Kurd ê stenbolê ye.

**Berhem:**

Girnewas,Wş.Ens.Stenbol,1998
Bihêle,Wş.Elma,2005
Ayîneke Pîroz,Wş.Elma,2005
Tirkî
Kurt Oyku Antolojîsî/ Antolojiya Çîrokên Kurdî,Wş.

# DESTANA MİSHEFÊN CERİBANDÎ

**1**
Di bajaran re em bihurîn
Kolanên wan gijbûyî

Daw, daçikandî
Li çaryanan gunehên barîner, gijlok

Bi destê xwe nixumandibû rû
Çaterêyan
Ji bêhna potînên paşayî

Ewran, ji biskên xwe
Poşmanî dadiweşandin

Çarmedor,
Xewnên risasî
Kevza tenêtiyê li ser dîwarên kavil
Nikulê keysperestiyê
Li ser xeyalên dawerivî

Zêwa serkeftinê
Mihrîcana miradan
Tofan
Û qirkirina nûciwanên du nifşan

Bar kirin ji vî warî
Çivîkên gewremizgîniya xewnên avzêrî

Barana hatî
Hemû pelezerê temenî vemaliştin

Di stûyê berşîr û mindalan
Bazbendên penaberiyê
Li ser eniya wan sirgonî, tenîheyvok
Li lênûska alfabeyê
Dilopên keserê, nexwendî
Û kelogiriyek,
Li ser pêsîra jinebiyan vezilandî
Şehweta balixiyê
Li ser termê bêkamiyê kokimek
Di hedexaneyê de
Ref bi ref em xesandî

Çiqas hebûn
Peyvên veşartî
Yeko yeko
Me ajotin
Ber devê çekên dilmayî

**İI**
Wan çeman
Bi serê serkeftinê sond xwaribûn
Çiyayan
Berbisk û gulçîçek
Bi gurçikên xwe ve dirûtin, sala gonê
Li beramberî cemedê

Wan çiyayan
Keçemêr
Dînemêr
Serhildêrên zemanî
Di barehgeha dilî
Û
Di berîkên şikeftên hirî
Kum û kolos û kulavên kejî de
Sincirandin
Wan rojên bapûkî

Milyonan çav
Legel dil
Tirêja hêza hêviyê
Li ser keskesoran kilîd bûn

Lêv
Li ser nivişta serkeftinê
Lawij
Sirûd
Dîlok
Dawet û şîn
Li demjimêra azadiyê siwar

Bi qudreta kaniya kil
Lêmîşta girnijîna bûkên salî
Tevnê xalîçeya dahatûyê
Nîşan ji kêlika armancê girt

**iii**

Nofek zîpik
Destek baran
Bareşek li ser goristanan
Miriyên pak
Ango pakrewan
Lehengên çemê sondxwarî
Pezkoviyên çiyayên çargurçik
Pirtûkên ceribandî
Vediçirînin
Li civîngeha goristanê

Mirî,
Zindiyên rawestgehê
Mêvanên Yezdanê gewre
Ango
Derketiyên vê cîhanê
Vediçirînin
Disojin
Di wijdanê qralekî bêwijdan de
Mishefên ceribandî

**İV**

Heçî zarok in
Hechecîk in
Dilopên pak in
Ji eniya Ehrîman
Xeydok
Lerzok
Behitî

Di vê gêjgerînka naletkirî
Ya li ser xaka welatî
Her gav û kêliya sî salên axirî

Zarok
Gulok in
Rîsê xav
Kulîlkên xwînî
Dahatûya me ya desteserkirî

**V**
Li ser
Sûretê xak û zuriyeta min
Tivinga daleqandî, dilmayî
Govend faşilbûyî
Bêhna hêmiya genî a salan
Li ser betona zindanan dûkelîner

Mishefên ceribandî
Awirên zarokan
Tûrek e
Barek e
Zarzarek e
Li ser pişta dayikan

**Vİ**
Heçî azadî û
Maf û serxwebûn e
Di pêpelûka qesra qirêl de
Hevraz e

Maye
Dûr e
Zûrezûr e
Kêferat e
Lê
Bawer bike
Dawiya dawî, felat e
Felat e

## VII

Heçî ev gotin in
Pestgotin in
Di şeveke xedar de
Laşsincirî
Li ber tayê
Bi hişekî nîvronak

Heçî pestgotin in
Wekî navê xwe zanim
Li wan nabe sibe
Hemû ewê şikerkevin
Li ber deriyê
Berbangeke çiksayî
Bi çavên felatî

## JANEKE BÊ EMAN Î TU…

Êvareke bê sebr rapêçam
Bi destên xwe yên nermîn
Kenekî sivik ez bi rêkirim
Bi mircanên berfîn…

Bihareke bêwar pêşwazî kirim
Bi hel hel û bi xuşîn
Du çavên şîn keserkûr kirim
Lê bûme xwedî derya…

Bajarekî bê derî ye êdî jiyan
Dilekî kilîtkirî,
Gotin nanisilin di kanîkan de
Janeke bê eman î tu…

## WÊ ÊVARÊ

Li wir,
Li mextela sozdayinê
Li ber çavên te
Min xwe bi ava êvînê şûşt

Li wir,
Wê êvarê,
Li ber çavên te
Min ala hezkirinê daçikand

Li wir,
Wê êvara kamafrîner
Te teşiya cazibeyê rêsand
Min peymana ehdê eşkere kir

Wê êvarê,
Çavên te, tilî û lêvên te
Birû bijangên te,
Peyama mizgîniyê dane e min…

## EHMED RONÎAR

### JÎNENÎGARÎ

Di sala 1987 an de li Batmanê ji dayik bûye. Li Kargeha Hunerên Bedew a Fewzî Bîlge de xebatên xwe didomîne. Li şikeftên Heskîfê, Batman, Amed û Antalyayê beşdarî pêşengehên hevbeş bû. Dîsa li Batman, Sêrt û Edeneyê pêşangeha xwe ya xwerû a bi navê "Rengên Xemgîn" vekir. Ji bilî Hunerên şêwekarî bi wêjeyê re jî têkildar e. Pirtuka wî ya yekemîn (helbest) bi navê "Baran Ji Acizî Dibariya" ji aliyê weşanxaneya Belkî'yê ve di 2006ê de hatiye çapkirin. Meha borî (sala 2006ê)pêşengehek a Kargeha Hunerên Bedew Soresor ê ku li himber xwekuştin û kuştinên li Batman'ê li dar xistibû, beşdar bûbû. Disa piştî wê, li Amedê di bin sernavê "29+1 û… bê hestî hiştî hiştin" pêşengeha xwe ya xwerû a duyemîn vekir…

**Berhem:**
Baran Ji Acizî Dibariya,Weşanên Belkî,2006

## HEZKİRİNÊN BARBAR

Carînan hevhebandinên min bê wate
Qêrînên min ji nalînên xiroşmeya pêştir,
Ne tiştekî din
Di hundirê min de peya yên Muptelayê seksê
Û hêla min î jintî
Ku heroj hinekî din qehp dibû

Min dixwest ku Bi orgazmê xwe yên barbar
Min dixwest ku Bi hezkirinên xwe yên barbar
Û nîvqehp hezbikim ji te

# LİQAT

Min ji xwe re manzeret liqat dikirin
Ji xeyalan welat
Fîşargoyê min ji xwe hebûn
Piştî tu çûyî
Monologiya min jî, dest pê kir
Û
Bê navber mirovên kêm dibin hene
Hundirên wan bi kolanên ji min ne biyan û vala tijîbûne
Tu zanî?
Vê navberê hemû masiyên ku min ew ji akvaryuman naskirine
Li deryayan dipirsin

**(ii)/(ii)**
Ez herdem / di temenê hezkirina te de 4322794
33 peyvên ji devên min diketin
Êdî xwe bi xwe zêde dibin
34, 35, 36 û 37…
Û hîn pirtir dibin
Û te hîn pirtir dikin

**(iv)/(i)**
Tu dizanî çi qas êvar hene ez di wan de
Bê te mame?
Haammûûûûûûûû êvarên bihurîn
Û hamû êvarên ku di hatina xwe de dereng mane

Xwedêyooooo!!!
Piştî mirina xwe ez dixwazim li ser xwe bigrîm
Bi ser êşandina êşa xwe de bitemirim
Û herim
Şînaryaaaa!!!
Ji min re kulmek çavên xwe bîne
Êdî!
Nema dikarim bêriya te bikim…

**(v)/(i)**
Ez te gişî dixwim
Çavên min ên reş
Di nav çavên te yên şîn de dizên
Di rûyê xwe de / sebra rûyê te tînim
Êş im
Û diêşim
Evînan difiroşim xwe
Û qederan dikirim ji xwe re
Şînarya! (qe)dera min!
Min kulm bi kulm
Tu di hundirê xwe de tijî kiriyî
Êdî nemirim!
Nema dimrim!
Stêrka min ya sêzdehan mar
Û selawatek e her maçek piştî iro
Axxxxx!!!!!!!!!!
Bi zikrê ketime ji selawatan
Min negrin

Êdî!
Ez jî kurê Meryemê me
Ez jî!!!
Wahiyên ji min re tên dinivîsînim
Peyvên ewilîn
Her dereke te
Ayetek e ji min re

**(v) / (ii)**
Di jiyana min a seksuwel de
Temaşekirina mirina min heye
Lê hertim jî
Hema berî orgazmê dimirim
Hema jixweber dimirim

**(viii)**
Şinarya !
Ji meytê min re kefenekî "sor" dirûtin
Ew qasî li min hat
Ew qasî pê xweşik bûm
Careke din
Min dil nekir ku ji xwe bikim…

**(i)/(i)**
Her barana rê dibariya li ser
Ez li ser dimeşiyam
Bajar diwestiya
Aciz im -aciz bûme-
Ji acizî min DNA' yên xwe derxistîne
Dihejmêrim

Yek, dudu, sisê, çar...
Û hîn jî dihejmêrim hîn jî aciz im
Pênç, şeş, heft....
Ji acizî…
Baran dibariya
Ji acizî
Wê jî çilapekên xwe dihejmartin
Heşt, neh, deh...

## BRO OMERÎ

### JÎNENÎGARÎ

Bro Omerî ji Herêma Omeriya ji Gundê Çalê ye. Sala 1942wê li Çalê têt dinyayê.Di salên 1953yan de li Gundê Cibilgirawê dest bi xwendinê dike.Li Nisêbînê dibistana navîn,li Edenê lîseyê diqedîne.Omerî di 1969 de Zanîngeha Stenbolê Zankoya Tibê kuta dike, di sala 1974ê de dibe Pisporê Cerehiya Giştî û di heman salê de li herêma Merdîn dest bi karê bijîjkiyê dike.

Piştî salên dûdirêj ên bijişkiyê Bro Omerî di sala 2002wê de teqawît bû û li Nisêbînê bi cih bû.

Kurmê nivîsê, viyana derkirina helbestê her da dû Doktor.Ew di ber karê bijîjkiyê re bi teybet piştî salên 90î bi helbestên şewaz-klasîk beşdarî rûpelên Kovara Rewşen,Nûdem..û Rojnameya Azadiya Welat bû.

Mixabin di demeke ku Omerî zend û bendên xwe bo helbestê ba dabûn de,li Nisêbînê di 4ê meha 1ê a sala 2007ê de çû ber rehma li Xweda.

Helbestên Bro Omerî wek dîwan nehatine çapkirin.Me helbestên wî ji kovar û rojnameyan da hev…

## DÎLGİRTİNA MİLÎTANEKÊ

Li Nisêbîna hemdem û rengîn
Payiza paşî dar û gul xemgîn.

Danê esirê pirî tengijîm
Bo hilmek azad, pê dilxweş bijîm

Derketim nava baxçên Girnewas
Ji kul û derdan bibime xelas…

Warekî pir xweş tev baxçe û dar
Ne kaşekî hov, newal û zinar…

Ji sal heta sal bihar û her dem
Her alî hêşîn wek Baxên Îrem.

Bi meşek hêdî, gavên pir giran
Ketim nav pêlên derya gûmanan…

Şalûl û bilbil, kewên xebxebşîn
Ser serê min re azad difirîn.

Ez wilo şad û ji xwe bi bawer
Wextekê bijîm bêderd û keser.

Kêf û şadiya me kurdên bindest
Dadigere şîn, xemê demildest…

Gurên devbixwîn, har û bêperwa
Nêçîr dikirin li erd û hewa

Berê xwe dane riya Midyadê
Xezalek rabû ji nava qadê…

Yeke pir xweşik, bi nav û nîşan
Hêviya kurd û kara niştîman…

Destvala, bêçek li vê dinyayê
Şêrê Elî be tu deng jê nayê.

Dane ser piştê bi "ewtîn, zûrîn"
Ji dev û qîlan dinisilî xwîn…

Bêmefer kete destê nemerdan
Ji wê rojê ve bûm pîrê derdan.

Bizav çênebû ji mêr û merdan
Li taxan dengê dahol û dîlan…

Gelo ev kurdên tevizî û xav
Ta kengî bijîn bêtac û nasnav?..

# DİLO

Erê dilo, lo lo dilo!
Agir kete sênca çilo...
Dinya alem bûne dewlet
Kurdistana min ma wilo...

Dilo rabe bilezîne
Bike hawar, biqîrîne
Dinyayê pê bihesîne
Kurdistanê bivejîne...

Tewlo dilo, jarê dilo!
Agir ketiye sorçilo...
Dinya alem serbixwe ne...
Kurdên gernas, mane wilo.

Dilo rabe xwe bide hev
Biryar bide bi dil û dev
Karwan Xabûr li pişt xwe hişt
Ro çû ava, li me bû şev...

Erê dilo, lo lo dilo!
Agir kete sênca çilo...
Dinya alem bûne dewlet...
Kurdistana min ma wilo...

Dilo rabe, dilê leheng
Bi tevahî û bi aheng

Em bixwînin pirtûk, ferheng
Bo felatê em bikin ceng...

Tew lo dilo, jarê dilo!
Agir ketiye sorçilo...
Dinya alem serbixwe ne...
Kurdên gernas mane wilo...

Dilo rabe! bi halê xwe
Bike qîrîn li gelê xwe...
Wekî şêran biçin çiyê
Têbikoşin bi dilê xwe

Erê dilo, lo lo dilo!
Agir kete sênca çilo...
Dinya alem bûne dewlet...
Kurdistana min ma wilo...

Dilo çima tu rawestî
Bê biryar û tu bê hest î...
Ez helandim, mame hestî...
Li qada şer, şûrşikestî.

## EZ ÛTÎTÎ

Welat li bin piyê neyar
Miçiqîn co, kanî, cobar..
Kavil kirin gund û cîwar
Sotin giya, devî û dar...

Zivistan bû, rojek pir xweş
Ez û Kenzan bi dilê geş
Derketin nêçîre bimeş
Min dît du teyr ên di çavreş...

Yek jê baz bû, ne cî û mal
Tîtî bi me re bû heval...
Ne marmarok û ne kevjal;
Welatek bê dar û ajal...

Derketin ji Nisêbînê
Min dît bazek li kemînê
Geh radibe, geh datînê...
Berê xwe da Cibiltînê...

Em çûn qeraçê Zorava
Li hevraz û li ber ava
Ne mirov, ne gundek ava...
Ku li wan bikin silava.

**Omerî**
Lo tîtiyo! Li vî warî

Çima wisa tu dizarî?
Ma kanî ew qewmê Arî
Bi ku ve çû; kîjan warî?

**Tîtî**
Law û nevî yên di Medan
Welat terk kir, zevi berdan ..
Ez û xiltekî kor lê man
Bûne hêvî; bûn notirvan...
.
**Omerî**
Kanî şalûl, kanî bilbil?.
Keyf û evîn dixistin dil...
Kanî reyhan; kanî simbil?..
Kanîn qitik ên çavbikil?..

**Tîtî**
Mame ez û xiltê nebez
Geh li hevraz, geh li nav rez. ..
Em kar dikin bilez û bez
Li Zorava û li Kepez...

Welatekî bêmecal e
Warê Egît; warê Zal e...
Xwedî îro ne li mal e;
Xilt cot dike; ez jî pale...

**Kenzan**
Ji tîtî re got, "ezbenî!
Ezman zelal, ro dikenî...

Vaye baz, ma nêçîr kanî?..
Ew çemên coş, mêrg û kanî...”

**Tîtî**
Li vî warî û li çiya
Ne dar şîn hat û ne giya...
Bêkes maye warên Medya
Xilt cotyar e; ez jî keya...

**Kenzan**
Bi dengekî kelogirî:
Hey wax keko! Bro Omerî
Xeynî tîtî, xiltê gurî
Kes nemaye li vî warî...

Kan î cotyar, kanî gundî?..
Vaye mezel, kanî zindî?..
Vane zevî, kanî xwedî?..
Xeynî tîtî yê bêfedî...

**Tîtî**
Kenzan! ka em werin ba hev
Biryar bidin bi dil û dev
Em kar bikin bi roj û şev...
Bikin warek aram, lihev...

Bi tevahî, bi kêferat
Bi dil û can bikin xebat...
Ava bikin gund û binyat
Jiyanek nû bidin Welat...

## EVÎNDAR İM

Ji derdê evîna yarê
Perîşan im, min sed eman
Ji beyanî ta êvarê
Şaş û gêj û wek serseman,

Wek sersem û wek sewsiya
Digerim li çol û çiya
Goştê canê min heliya
Şiyan û qidûm jî neman.

Ev ar ê taya evîn e
Nefes li min diçikîne
Min ne mecal, ne hekîm e
Manendê êşa bêderman.

Dil bi birîn û mûmar e
Xedeng li destê nojdar e
Ji ber daxan min hawar e
Qîrek li erd, yek li ezman.

Evîndar im, ez ne dîn im
Di eşqê de Mem û Zîn im
Dil pare û bi birîn im
Ji dil diçe pêt û dixan.

Heta ku ez te nebînim
Maçek ji lêvan nestînim

Pê sedsalan neqedînim
Qet namirim û esselam.

Keçê were ser vî mirî
Goştê ji hestî feşkilî
Carek dest deyn ser vî dilî
Ku lêde manendê keman.

Keçê were min bibîne
Derê mizgeftê danîne
Mirî me, tu bivejîne
Weke Îsa, lê be selam.

Bila em her du zînde bin
Dil de gul û kulîlk vebin
Bi mirinê cuda nebin
Mîna Mem û Zîna Zêdan.

Keçê ji bircê were der
Seryek bide dilê b'keser
Lê ba bijen bi pora qer
Ji bîr bikim kul û derdan.

Ka em biçin bexçê gula
Rizgar bin ji derd û kula
Zend li bin seryan bin bila
Doşek erd be, lihêf ezman.

Ka em herin Omeriya
Li nav bax û hûrdeviya

Tu bibî diya sebiya
Ew çax mirin li ser çavan.

Gelek wek min evîndar in
Bêderfet û ne li kar in
Hin ji wan jî li sêdar in
Wek ev car û wek her deman;

Evîndarê çavên belek
Pora tarî, biskên xelek
Bro Omerî wisa gelek
Dil şa dike bi xeyalan.

## HER WAREK Bİ BİLBİLEK

Her bilbilek bi gulek
Her bilbilek bi dilek
Bilbilê Kurdistanê
Yekî bêper û kulek

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Xem nîn e, ew bilbil e
Evîndarê sorgul e
Bêper û bêperwaz e
Dilê wî jî bi kul e

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi dilek...

Gula wî yeke sor e
Sed dirî li derdor e
Bo çi bijart gula han?
Bidestxistin pir zor e.

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Her çiqas sitemkaran
Bi tundî û bi daran
Çîm û perwaz şikandin
Lê, gul neda neyaran

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi dilek...

Te awazek nerm heye
Bo gulê qedîfe ye
Rabe hûrik bilorîn
Bo dijmin pir qebe ye

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Bilbilê hêla Botan
Îro li te zivistan
Wê bihara te jî bê
War dê bibe gulîstan.

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi dilek...

Bilbilê Warê Boşo
Li te dijminqidoşo
Gulîstan lewitandin
Divê tu paqij bişo

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Bilbil! Tu jar û mestî
Bo gulê bûyî hestî
Bi derdê te dikele
Dê çi ke, ew bindestî.

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi dilek...

Bilbilê lata gelî
Bigrî digel Omerî
Gulîtan şewitandin
Tev bû rijî û xwelî

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Bilbilê Kevrê Biqul,
Serhed û warê kavil...
Bes bixwîne bi kovan
Te heland hinav û dil.

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi dilek...

Hooo! Bilbil, lo bilbilo!
Perşikestî, dilbikulo
Bihar bi ser te de hat
Rabe bixwîn ji dilo.

Her warek bi bilbilek
Her bilbilek bi gulek...

Bilbilê Şax û Şêbê
Vê bihara ku wê bê
Gul, kulîlk devliken bin
Gulîstana ku lê bê

Her warek bi bilbilek .
Her bilbilek bi gulek
Bilbilê Kurdistanê
Yekî bêper û kulek.

# MİRAZ RONÎ

## JÎNENÎGARÎ

Miraz Ronî di sala 1966'an de li gundekî Betlîsê yê bi navê Nîstê hatiye dinê. Dibistana seretayî li Norşên û Tetwanê, ya navîn li Tetwanê û Lîse li Tetwan û Betlîsê qedandiye. Li Zanîngeha Anadoliyê beşa Îktîsadê xwendiye û belgeya karê hesabdariyê girtiye. Piştî sala 1992'yan di nav gelek karên çandî û siyasî de cih girtiye. Di HEP'ê (Halkin Emek Partîsî) de li Norşêna Betlîsê cih girtiye. Her wiha di damezrandina DEHAP'ê (Demokratîk Halk Partîsî) de wekî damezrîner cih girtiye û demekê serokatiya rêxistina DEHAP'ê ya bajarê Mersînê kiriye. Di NÇM'yê şaxa Mersînê de demekê dersa zimanê Kurdî daye zarokan.

Di sala 1998'an de di desteya kargeriya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê de cih girtiye. Di vê maweyê de tevlî

hemû kar û barên rojane yên enstîtuyê, bi awayekî aktîf tevlî xebata dersa kurdî, xebatên li ser ziman, karên redaksiyonê, karên weşanê, werger û her wiha wekî panelîst beşdarî gelek semîner, panel, konferans û sempozyuman bûye û li ser çand û edebiyata Kurdî gelek axaftin kiriye. Karên xwe yên Desteya Kargeriyê ya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê heta sala 2003'yan domandiye. Hêj wekî endamekî Senatoya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê xebatên xwe didomîne.

Miraz Ronî, di sala 2000'î de tevlî qursa zimanê Kurdî ya li Zanîngeha Uppsallaya Swedê bûye û sertîfîkaya mamostetiya Kurdî girtiye. Di salên xwe yên li Enstîtuyê de çend caran wekî wergêrekî fermî li DGM'yê (Devlet Guvenlîk Mahkemesî) wergêra Kurdî-Tirkî kiriye.

**Berhem:**

Di Siya Dara Xaçê de Serhildan; helbest, Weşanên Pêrî, Stenbol 1999

Pratik Kürtçe Konuşma Klavuzu; Mulazim Özcan, Gün Yayinlari, Stenbol 2002

Tesewira Xaniyê Fîlozof; H. Mem, Wergêr Miraz Ronî, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2004

## Lİ SER BÎRANÎNA EHMEDÊ XANÎ

Ji zayîna rûmeta mirovahî
Ji destpêka dîrokî şehrezayî
Ji deryayê zanistî û zanîne
Ji honandina rista şerê jinê
ji bermayî yên şûrê setemkaran
Ji kavil û xopanên dîl û jaran
Ji kerb û hesreta çend hezar salan
Ji îbreta çîroka bav û kalan
Ji pêsîrên dayikan şîrê helal
Ji kezeba vî erdê ava zelal
Parî parî dilop dilop te paland
Li parsiyên me yên tazî te aland
Ji meydana kemalê bê kemalî
Te rûmet jê afirand, nema xalî
Te anî rehê Melayê Cizîrî
Li dû, te vejîn kir Elî Herîrî
Te kêfek da dilê Feqiyê Teyran
Ji te ra dinê hemû maye heyran
Piştê te çend sedsal dane me dûrdi
Bes dîsa, me berneda zarê Kurdî
Ew zimaê te anî întîzamê
Her dem rûmete ji bo êl û amê
Ew Kurdên melûl û jar û bê hesêb
Te ji bo wan afirand ilm û kitêb
Tu bûyî merîfet û esl binyad
Bi te tim serfiraze gelê Ekrad
Ey seydayê bi rûmet û dilovan

Tu ji hîsên me re bûyi Tercûman
Te dil da kurdistan,birka evînê !
Lewra te kir bahane Mem Zînê
Li tîbûna hezar salan bû kanî
Bang û zarê bêzaran Pîrê Xanî
Tu bûyî sitêra jînê xan û ban
Li hewşa te xwe hatin zarên Kurda
Tu bûyî tilsima şitla hebûnê
Tu bûyî serkaniya serxwebûnê
Bi kotekî û hejaran bûyî giyan
Kî vxwar qurçek ji te rabu piyan
Wek Mehemed, Riza û Şêxê Şirîn
Wekê Osman, Celadet û Cigerxwîn

Belê dilê Kurdan hêj bi birîne
Çan ku dîroka Kurda tew bi xwîn e
Hêj jî miselletin li serê Kurdan
Werîsên mîratên Beko yê Ewan

Piştê te çendî car kirin goristan
Sed car şewitandin xaka Kurdistan
Amed û Dêrsim, Zîlan û Agirî
Lîce, Şernex, Helepçe û Qoçgirî
Zilma Ereb û Ecem li hêlek e
Singû yêjon Tirkan jî li kêlek e
Alek min merdî, mêrxasî, rûmet e
Alek min ji dojeha xiyanet e
Alek min xirab êxistî, xopan e
Alek min tim li piyan wek çiyan e

## ii

Ew enyada te ya hember bêdadî
Hiş û giyan e bo me tu jî zad-î
Şîretên te ji me re dewr û dersin
Îro li şopa te hezarin girsin
Her ku em pirsa xwe ji, te dipirsin
Em li dilê nemerda xof û tirs in
Îdî Egîtin biçûkêd Kurmancan
Erdhejin li textê sahîb rewacan
Îdî Kurd bo sahîban ne gedan e
li doza serxwebûnê canfedan e
Wer ji te re bidim methê mêrane
Her yek pelengek ar û ejderhan e
Qirp û qiyamet e ew li piya ne
Giyan pola û têjikê çiya ne
Car diwelidîne Guderz û Rustem
Vejîne li Dehaq Kawa'yên Hemdem
Kemal û Heyrî û Xakî û Mezlûm
Ronî û Rûstem û Mizgîn û Mehsûm
Azad û Dêrsim û Bager û Sozdar
Roza û Merwan û hezar û hezar
Ew Kurdên ku Romê li Agirî gorkir
Egîtên bi xwîna xwe nû bi can kir
Ew Kurdên ku li ber dijmin serî qor
Lehengên Kurdan îro hildane jor
Şitla azadiyê bi xwînê avdan
Bûn şan û şeref û li dinê nav dan
Îdî Kurd li piyanin û dimeşin
Wekê berê ne kor û çarereşin
Îro Kurd jî bi serok û partî ne

Li doza azadî ber pê xwe dîne
Îdî Kurd li xwe xwedanin piranî
Mizgîn li te ey şêx Ehmedê Xanî

## MESELE KÛR E

Mesele kêr e dawe giran e
Ev doz ne doza qelsemêran e
Ev dîlan ya şêremêran e
Divê can ê ser mirov lê dane

Qelenê yara me giran e
lewra yara me xemla cîhan e
Her çi doza wê bi êş ê jan e
lê ew xîrete ne ya berdan e

Kî şoreşgere li Kurdistan e
Sêcdarek mezin ê pir giran e
lew gereva wê xwîn e, zindan e
Qîr nalîn ê şer ê giryan e

Ev rê evraze tev gaze dêr e
Newal ê zinar sînor ê sêr e
Neyar dîn ê har kêçika sêr e
Xwînmêj ê reşmar keftarê pîr e

ji vî dozê re divê mêrê mêr ,
lawê egîtan ê têjikê şêr
Divê eslek neriz ji zîv ê zêr
Divê berxwe de bin kêr

# DİLÊ ÇAR PAR

Bi fixan û hawar e dil
Sing sêla sor tev ar e dil
Sed derpan birîndar e dil
Ku îro dil çarpar e lo

Parek dil nik Ronî ye çû
Parekî Dara bir li dû
Parek li rik hêrsan disû
Yek li min dîn û har e lo

Van xayînan, van nemerdan
Çendî egît li me der dan
Ey bjîşkê jana kurdan
Min hinav tar û mar e lo

Birîna min çendî kûr e
Lehiya xwîn jê difûre
Li ser gerdena min şûr e
Gelo mirin çend car e lo?

Şêr di qefes di zindan e
Gur dizûrin li meydane
Çi bext e ev çi dewran e?
Felek ev çi bazar e lo?

# GİLIYA KURD Bİ KURDİSTAN

Tu bûyî Zîn Zîn'a Zêdan
Te ez kirim Mem'ê Alan
Nemerd bûn Beko'yê Ewan
Wan te ji min , min ji te kir

Bê te nexweşim bêhal im
Bi evîna te dinalim
Heliyame post çermetal im
Sedem ku min his ji te kir

Bo te şandim sed xazgînî
Minra kes nanî mizgînî
Kî hat gote min tu dînî
Herek kulek li min vekir

Wa jar nebûm li tu wexta
Bûm ji tac û bûm ji texta
Ez ketim tora bêbexta
Şer û îsyan fayde nekir

Bes ji zindan min derînin
Zû Bozê Rewan bişînin
lez loqman li min bighînin
hêj ku axa reş min nebir

Gelo dilsoj kesek nîne ?
Şûr ji kalan bikêşîne
Lêxe heyfa me hilîne
Ta ku xwînê cendeka bir

## BÊ WELAT HALÊ MİN

Pêt û brûsk bibî xewn û xiyala min
Çi dar û ber hene bibin şemala min
Hîv û roj hevdu bigrin bêne mala min
cîhana min bê te tari ye Kurdistan

Ji lal û dir text çêkin min danîn li ser
Birc û sera bo min çêkin ji zêrê zer
Hezar zerî ji bo min bînin danin ber
Kezep li min bê te pari ye Kurdistan

Li şîpika min hev bigrê nêrgiz û gul
li he belgê daxim hêlîn şalûl bilbil
Yek xema bimalê ya din kula ji dil
Bê te hingiv li min jehri ye Kurdistan

Ger xulam bim bibim axa, bibim wezîr
Ger gavan bim bibim paşa û bibim mîr
Ger şûna nan dobe bixum, şûna av şîr
Bê te xemgîn bê halim Kurdistan

Ger bibim ba û babelîz bibim bager
Ger rabim qîça bibim dêwek a heftser
Ger bibim çiya di ewran ve bidim der
Tu nebî kortim newalim Kurdistan

## GER MİRİM

Ger ez mirim
Bila tu kes nebê min ax !
Ê ku dilan de pir şirîn im
Bila bêje serê Kurdistan bibî sax

Ger birîndar ketim ez bi hezar derpan
Bo min negerin li derman
Ger wîn pir ji min hes dikin
Lezkin xilaskin Kurdistan

Ger rokî ez bûme zava
Bo min bûkê bi xêliya rengreng nexemlînin
Ger ku dilê we de pir ezîzim
Kurdîstan ji belga gulê bixemlînin

Bila xort û egîtên Kurd
li ser pişta kihêlên xurt
Dest ji destê birevînin
Ger ku divêtin xwîna lawê Kurd
Bigirin min şerjêkin
Di ber bigerînin

## WÊ GAV JİYAN

Gelên cîhanê hemû tev
Sipî û reş hindik û zehf
Bibûna bira li gel hev
Wê gav jiyan çiqas xweş bû

Ewrê rûreş qelişîne
kelên zulmê pelişîne
Zordar li ser biqeşîne
Wê gav jiyan çiqas xweş bû

Birq xwe ji rojê xwe berda ser
Zîntol bûye zilmat ji ber
Kaniya jiyanê bida der
Wê gav jiyan çiqas xweş bû

Qe tu dilê nekêşa ax !
kulên xedar tim bûna sax
Dara şayoka bida şax
Wê gav jiyan çiqas xweş bû

Li tu xakê nema nalîn
Berda hovîtiyê zanîn
Li rêçika Rêzan lenîn
Wê gav jiyan çiqas xweş bû

Dinê bûya gul gulistan
Bûya derman bo bindestan
Azad bûya min Kurdistan
Wêwav jiyan çiqas xweş bû

# DÎLBER HÊMA

## JÎNENÎGARÎ

Dîlber Hêma, di sala 1981ê de li Qosera Mêrdînê ji dayik bûye. Dibistanên seretayî, navîn û lîseyê li Qoserê xwend. Niha li Zanîngeha Anadolu, Fakulteya Hîndekariya Ji Derve, Beşa Berêweberiya Gelemper dixwîne. Ji sala 1999an û vir ve bi kurdî dinivîsîne. Hêma ligel nivîskar Yaqob Tilermenî helbestên Şükrü Erbaş bi navê "Cam û Kevir" ji zimanê tirkî wergerandine zimanê kurdî. Di gel ku helbestên Dîlber di kovaran û rojnameyan(Kevan,Azadiya Welat)de cihên xwe girtibîn;weke dîwan hêj çap nebûne

## MİZGÎNXÊRKÊ

Weke wendakirina jiyanê
Bê beşawend û bê newayên çavşikestî
Dibînim mizgînxêrkê.

Tu kes ji zimanê baskên te fam nake,
Mizgîn tekamûlan derbas dike
Di hundirê min de.
Li benda te me.
De wer! Wer belav bike!

Rengê te
Xwe li çavên min bar dike.
Bi zerikê dikevim.
Ji bo ku
Mizgîna te ya mirinê
Di nav mizgînan de cih girtiye.
Zerika reş
Tarî dike çavên min.
De bifire! Bifire mizgînxêrkê!

*Rojnameya Azadiya Welat*

## NEPENİYA BÊPERDE

Bedewiya bêdawî
Ne li bendê
Nepeniya bêperde
Qedera temenekî didaweşîne
Ji piyan
Û li wir bêwar diraweste
Evîndarekî çolê

Dadigire bi kefa destên xwe
Saeta xîzê
ji dagirtina wê
dema xwe distîne rojava
Û xwîn diraweste
Diraweste xwîna zemên

Hew dikare şûna wextê bigire
Xwe dadikim wêneyekî lal
Ristan diafirînim ji menzelê.
Û destaneke neşuştî ye
Xelasbûna min!

*Kovara Kevan, Hjm. 1*

## MASÎZÎV

Ji dengê qaqlîbazan dibihîsim
Melayikên ji stêra rijyar pengizîn
Xwe di şîrê dayikê de dîtin

Hevşabûna Xwedayên abadîn
Diherikîn deryayên şîr
Û li ser çermê masîziv hatibû neqişandin

Gustîla zîv
Bi destên xwe dadikim şîrê dayikê
Û radipelikin gustîlê
Masîzîvên pevşa

*Kovara Kevan, Hjm. 5*

# PİNPİNÎKÊN HİŞK-KİRÎ

**Beşa yekemîn**
Pinpinîkên emirqutî
Li ber barana nixurî
Ji bo zivistaneke din
Rêzik bi rêzik darvekirine
Helbestên hişk-kiri:
Ji bo evîna Xweda û Xwedawendan
Bedena min pîroz e.
Kefa destên min
Hêlîneke tarî û bê werz e.
Çaven min
Malzarokeke giriyê şîrdadayî ye
Ji zarokên şîrmêj re.
Lêven min
Evîneke bi lîrîk e
Û bendewarê maçên te ne.

**Beşa duyemîn**
Piştî guhên jêkirî
Nalînên ku ber bi ezmên ve hildikişin
Qey lavayên dilê bedenê ne.
Ma ne denge kundê kor e?
Denge pepûkên dengketî
Bi sekinandineke xizanî
Belav dibe:
Pepûk!
Pepûk!

Pepûk!
Pinpinîkên emirqutî
Li ser guhên jêkirî,
Helbestan hişk dikin,
Ji yomê kundê kor
Û ji hawara pepûkên dengketî.

*Kovara Kevan,Hjr 2*

## MEDÛSA

Xwîn dibe baran
Dineqişe bi dilopan
Çavên xezalê
Xezal
Li xweşikbûna xwe
Mikur tê

Xwîn dibe jahr
Pê vedide
Porê Medûsayê
Digirî sarinca bin erdê

Xwîn dibe bahr
Di xew(n)ên arî de
Kevz digire
Deqên dayikê

Ji şevên bêkolan
Sîlueta keçekê didize
Xezala beza
Û
Ji bilî bêjeyên bêjî
Namîne stêrk li asîmanan

Dilên dil(ber)keçik
Dipengize ji malên kavil
Û

Ji pêsîrên Medûsayê
Diherike xwirêza jiyanê

Baran
Li dû xwe dihêle
Xweşikbûna xwe
Bar dike ji bajaran

Jahr
Xwe jahrdadayî dike
Bi bargiraniya welatekî gulîsor

Bahr
Bi med-cezîra botanê
Tewaf dike tirba mem û zînê
Û dimiçiqe (bi hawar)

Li xwînê dilikumim
Helbesta qîzanî
Di xwînê de dihêlim
Û diherim...

# DÎWANA AX(ÎN)Ê

Di şikestina axeke rengesmer de
Yê ku sernişivî morana çemekî bûbû
Kî bû?

Di êvara bajaran de
Jinek
Bi guliyên xwe dinivîsîne
Li ser rûpela axê...

**İ. Rûpela Axa Sor**
Li giyanê nobedar digere
Şilfîtazî
Hestên di goristanan de
Û
Xwe li şopa lêvên te radikişîne
Giyanê dilxemgîn;
Lê bajar xwe dişemitîne
Li stêrkên kevnar
Nagihîje bajarên te.

**İİ. Rûpela Axa Reş**
Di hingûra êvaran de
Didize dîmenên lêvên te
Neynikên biyanî
Dirijîne li ser evînan
Zirêçê nezerê
Dimîne li dû te
Çavşînkên çavan!

**İİİ. Rûpela Axa Cûn**
Dîtina di ruyên qeşufî de
Û bi gwînê huznê re windayî
Ji keçikên gazinbêj re
Ferhanga evînê vedibêje
Evîn her şev xwe dişibîne welatê te
Li maçên xwe digerim ji hesreta gwînê te

## “Bİ MİN RE BİJÎ !”

Çav diqirpîne helbesta min
*Rêzikek ji helbesta Anna Ahmatova*yê:

*“Payîz di navbera darkevotan re*
*dikir piste pist û digot: Bi min re bimire!”*

Rûpelên windayî bi qasî temenê payîzê
Zer li ser maseyê
Şopên di berfê de
Reş dixeniqîne çûyînan
Lê bîranînên spî
Dadigire şûna şopan

Bi wêneya rojê ve dizeliqe
Xwekuştina masî
Pênûs diperpite
Kaxiz ber bi reşbûnê ve diçe
Zimanê tenêtiyê
Li dû hezkiriyan tenê dimîne

Dara pirtûkê di taldeya kuçeyan de
Pel bi pel diweşe
Ser bêdengiya kolanan
*Vediniciqim-*
Pelek jê dikeve destên min
Bi xwendina rû(pel)an
Bêriya dahatûyan dikim

Dahatû kesk
Di kefa destên min de

Li odeyê rûpelên zer
Hezkiriyên qerebalix
Dara bêpel
Dahatûyên hûrbûyî

Helbesta min ji der ve ruyê xwe da
Xumamiya paceya li hundir
Bi temena helbesta *Ahmatova*yê re bişirî û got:

*"Ligel temenê helbesta te yê 94 salî*
*Bi min re bijî!"*

# KALÊ QURDÎSÎ

## JÎNENÎGARÎ

Kalê Qurdîsî,di sala 1948ê de li gundê dîrokî,Qurdîsê hatiye dinyayê.
Ev gund bi ser Mêrdînê ve ye;bi av û dar gundekî şên û bi şînahî ye.

Qurdîsî li vî gundî dibistana sereta kuta dike.Di sala 1992ê de ku hikumeta Tirk gund vala dike,
tê, li Nisêbînê bi cih dibe.

Ew niha geh li Nisêbînê dimîne,geh diçe İzmîrê,cem zarokên xwe.

## SIRRÊ ÇAVAN

Taca keyan li ser seran çi zêrîn e
Zulfên sohrab reng agirê Zerduşîn e
Mijgul tîr in ebrû kevan Rustemîn e
Hesreta te dilê min de sed birîn e

Ji kilê sûphanî ew çav xeyîdîne
Ewrê ezmanê çavê te pir tanne,
Hêsir tên xwar li min wek şop û lehîne
Sed hezar sir û pirs te de vêşartîne

Westiyam di rêça te de tu nabîne
Gelek geriyam lê qet bersîv min nedîne
Dîlan veke rastê ji te bi hêvîme
Pir bêhalim kalê teyî qûrdîsîm e.

## NAVÊ TE

Dev û lêvên min şewitîn
Hingî min gotî navê te
Cerg û hinav tev peritîn
Ji gotina şêrîn navê te.

Evîna te pir girane,
Bûye pizka ser zimana
hesreta kal û ciwana
Nikarim bêjim navê te.

Jîr û zana evîndar bûn
Gemas û xort û ciwan bûn
Ew jî wek min vê rê de çûn
Ji bo wê şêrîn navê te

Zozanê te tev gulîstan
Çem û kanî gûl û rihan
Tuyî ceneta li cîhan
Xweş û şêrîne navê te.

# RONİYA ÇAVÊ MİN TU YÎ

Roniya çavê min
Xwîna dilê min
Mêjiyê serê min
Xem û kûlê min

Tu yî jana min
Tu yî cana min
Tu yî xana min
Tu yî yara min

War û axa min
Gund û taxa min
Mûş û şaxa min
Gûla baxê min

Tu yî jana min
Tu yî cana min
Tu yî xana min
Tu yî yara min

Deng û saza min
Dawe û doza min
Sond û soza min
Rind û boza min

Tu yî jana min
Tu yî cana min
Tu yî xana min
Tu yî yara min

## BILBILO

Were bilbil xweş binale
Nebêje ma ev çi hal e
Derdê xwe ez bêjim bilbil
Te bimîne bê deng û zare

Halê xwe ez bêjim bilbil
Derd û xema êrîş bir dil
Li ser can tim keder û kûl
Cerg û dil ji ber dinale

Kes nebîne çi zor derdî
Min derman û melhem nedî
Min dikûjin hêdî hêdî
Selo azad û hêjar e.

Ji min tim ev qîr û hawar
Bilbil jî ma bê deng û zar
Va îro jî li min bû êvar
Ma ne bi şev êş dijware.

Bi şev birîn di axive
Cerg û hinav dihêrive
Dil betilî hêdî dilive
Kefen bi min re hevale,

Melkemot li can bû suwar
Dil û hinav tev hatin xwar
We gelekî keda min xwar
Qet li we nabe helal e

Bilbilo eve halê min
Ev bû sîh û dû salê min
Kirin wêran temenê min
Qurdîsî kalkî sed sale.

## KEÇA MEDYA

Tu yî xemla vê cîhanê
Çav ji rengê gola Wanê
Tu yî Xeca ser Sîpanê
Çiqas tu şîrîn î canê

Çi delalê keça medya
Dema Li min nêrî û Kenya
Dîn bûm hiş û mêjî firya
Bûm evîndarê ciwanê

Te hembêzkim her çar milan
Bikim yek wek baqê gulan
Ala te daynim ser milan
Wey lo Kalo bi qurbanê

Gernas bi dû de bezîn e
Tev ji bo te xwezgînîn e
Dîcle û Firat du kezîn e
Dem hîva çarde Nîsan ê

## KA A MİN BE

Ger tu ne delal û rind be
Çi evîn e di dilê min de

Evîna te ne ji agir be
Çi hêsîrin di çavê min de

Dêmê yara min sor nebe
Ne ji xwîna canê min be

Bihara te rengîn nabe
Ne Newroz û cejna min be

Warê te qet şahî nabe
Ne ji keç û xort ê min be

Tû xweş xanim û xatune
Ger şûn text ê dile min be

Li ser rûne bi nazdarî
Xec şêrin û Zîn a min be

Te himbêzkim her çar parî
Hec û qûble û kâabâ min be

Ma wê kî te bide zanîn
Ne pênûsa kalê min be

## MA NE BES E

Agir dibarî ji kenê te
Tîr û bêr in awirên te
Hezar sal e ez benda te
Bûye dîrok evîna me

Feqî got dîlber û delal
Cizîrî kir şeng û şepal
Cegerxwîn ser qir û hawar
Hemû ji ber evîna te.

Sobar û rustem û Mîtan
Selahedîn û şerefxan
Gellek gernas û qehreman
Me qelen da ji bona te

Yado Simko İhsan Nûrî
Kalê şêx Seîdê Pîranî
Riza û Mihemed Qazî
Ew jî ketin diroka te.

Îroj jîr û zana û ciwan
Hemû rabûne ser piyan
Ma ne bese kal bi qurban
Ka destê xwe zû bide me

# AGIRÊ EVÎNÊ

Tu xuncek ji gula bû
Vebû rojek bihar e

Ji kaniya dilan bû
Tasek av da min yarê
Mizgîn ew ket evînê
Em bi hevre bijîn jinê

Ma ne bes e delalê
Hisû aqlê min balê

Çi derdê gelkî dijwar
Dikşînin ê evîndar

Te ez kirim dîn û har
Nayê rayê sed hewar
Debar nabe qet pêre
Awir xençer û kêr e

Ma ne bes e delalê
Hişê kalo ma li balê

Ew agirê evînê
Te kir wek yê cehnemê

Xiste nava dilê min
Zor kiriye jiyana min

Tabû hêrsê çavê min
Ketî nava jîna min

Ma ne bese delalê
Hişê kalo li balê.

## EV ÇI JÎNÊ

Xweşî û şahî te neda min
Jînek bê ken kir para min
Parçe perçeye war ê min
Yêzdan navim ev çi jîn e

Bi hezaran derbas bûn sal
Jînek nexweş her demê tahl
Te daye vî rebenê kal
Yezdan navim ev çi jîn e

Ez însan im ka heqê min
Kanê war û ka xaka min
Kanê çand û hunera min
Yezdan navim ev çi jîn e

Ji nûv re min bin jiyanê
Azad bikim Kurdistanê
Bi rûmet bim li cîhanê
Yezdan navim ev bi jîn e

## BARAN

Baran barî
Erd şil nebû
Bihar hatî
Gul venebû
Qismet nebû şans tune bû
Miradê me
Bi hev nebû

Ez bi tenê
Li vê cîhanê
Tû li zîndanê
Çare nebû
Roj çû ava
Ronî hebû
Bextê kalo
Herdem reş bû.

# MEM BAWER

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1973'yan de li Bismilê li gundê Safya ji dayik bûye. Di 1997'an de Zanîngeha Dîcle Fakulteya Perwerdeyê qedandiye. Helbestên wî di kovara Jiyana Rewşen, Pelîn, Kevan, Kulîlka Ciwan, Tîgrîs û Pîtoresk de weşiyan. Nivîsên wî yên rexneyî di kovara Bîr, W û di rojnameya Azadiya Welat derçûn.

Dîwana wî ya yekem '***Monologên Evînên Kedîkirî***' sala 2004ê Weşanxaneya Bajar çap kir.

Bawer li Amedê dijî,mamostetiyê dike.

**Berhem:**

Monologên Evînên Kedîkirî,Weşanên Bajar,2004

## RAMAN(TÎZM

Di qelûna êvaran de diqele evîn, şevçirayên şeva dilbijok û nûznûzok,
Şewla xwe tevli axînkişandina kûrahiya keserên biriqokî dikirin û tenêtiya
Bajarên dilkevirreş dibe qesasê temenê takrihana rengîn,
Weyla...!

Di vê şeva havîna qûnsor de, dev diavêje canê xwe ba.

Sosinên ku sûsa xwe ji esmerbûna êvarên porên te digirtin,
Xwe bi bisk û keziyên darbîşengan dixeniqînin niha.

Qesra keseran
Kesera kesan
Tu yî siltana qesran qesra dilînan..!

Her êvar û her war
Li çongên te digeriya serê min
Tu dihat û baran dibariya
Her piştî barînê baran dibû bêhna te
Û her carê min digot qey kêvroşkên xirdobelek in
Dest û pêçîkên te.
Min zû jiber dikir her carê, bi cizbeke belengaz û têra xwe sofî
Û bi serekî sermest dixwend zend avesta zendên te.

Dewsa diranê te dima li ser...
(nabe ku ez bêjim eyb e keçê.)

Tu yî siltana qesran qesra dilînan..!

Tu yî destpêka hemû rûpelên dîroka evînan, tu bibî mêvanê kê
Li bin guhên hev dikevin hemû hest, raman, daxwazî, zanistî,
Rûreşî û bextewarî.

Te dest biavêta navika xewnên kê, wê danê kelecaniyeke lerzelerz
Û rengomengo dimixmixî ji rûyên wan ên şermokî.

Heta çongê diketin nava çîroka jiyana te ya mirtoxeyî...

Her kesek navekê li gorî dilê xwe li te dikir, hinekan digotin êş,
Hinekan digotin rûkenî, hinekan digotin qeşmerî, hinan jî digot evîn.

Lê min digot bûka ber dara miradan
Û her ku perçeyek potik min bi çiqilên te ve girê dida
Destvala dilikumîm di vê riya reş ya berdî berdan de.

Min navê bûka ber dara miradan li te kiribû û her ku ez diqeherîm
Bi lêvên lerzokî, bûkikên sor li kêleka pelûnên çavên min derdiketin

Û min wan bûkikên qirêjokî bi biskên dotmama xwe derman dikir.

Her carê kî pêrgî te bihata, diqiçqiçandin diranên xwe
Lê dîsa jî baş dizanim evîn...

Tu yî siltana qesran qesra dilînan..!

Kî biketa tora te, lêvên wî dişindilî, dilsojiya wî dipelçiqî
Û dikete taya mirina kiras_spî hêviyên wî yên dînokî.

Kezeba xewnên wî diperîtî di tenûrên goştên soringî de.

Ey evîn..!
Evîndar ji bo te diçin geşta sêvên lêvan
Bi rûyên fediyokî û şerpeze
Zimanê xwe gez neke û çelaqiyan neke.
Bêtir bêriya birînên te yen hevrîşimî dikim
Di vê havîna çîrzelik û qemirandî de…

Tu yî destpêka çirûskên bi bahoz.
Tu yî siltana qesran qesra dilînan..!

Her êvar û her war
Xilav dibû xilolîk û bi xuroşî dibariya
Her piştî barînê baran dibû bêhna te
Û bêhna kizûrî difûriya ji jiyanên belqitî…

## ÇİYA

*Li vî welatê dîn û har*
*Hemî gir dixwazin bibin çiya û bigirin bar*

Êş werîs
Çiya req û rût
Deşt ziwa
Pûk bûka sondxwarî
Berf mirina şêremêrek di dilê dayikan de kulor
Lorîk reş
Morîk şîn
Çiya sor
Xwîn germ
Û mirin, barê giran para mêran
Mirin nivişta dînan
Li ser milên şêremêran
Ev çi wêrekiye birako
Rihê wan ditirse ji dilên wan
Meriv şêr be
Û li ser şêreşenga çiyayekî
Mirin şerm be
Çi xedar e
Çi xedar e ku baran bibe berik
Û li ser serê te bibare
Biborin, bibexşînin
Mirin şîn e
Li ser hêlîna lêvikên dayikên çavşîn lîs bû ye
Mirin qêrîn e
Di zengelorka fetisînok ya pîrekên xwedî kirasên

heftrengîn de
Mirin lorîn e
Bejn û bala simbêlên reş diherifîne
Em dereng têgihiştin ku
Hevalê barê ketî tune ye
Me qûşa jiyanê qetand di vê şeva kafiristanî de
Pira dehderî deriyên xwe li me qefalt îro
Deşt şil bû
Zêmar fetisîn di qirika ava şolî de
Mêranî betal bû…
Temen bû şûşa dilê şikestî
Di gora zilûmatî de.
Û çiya pûş û pelax
Çiya tarî û pilolo
Erê lo…!
Her kes li gora xwe mêre.
Destbirako…

## PÎVAN

Tu evîndara min!
Di erdnîgariya giyanê min ê tî de
Bi qasî zeryayekê mezin e evîna te
Ez dilopeke baranê me
Û bi qasî okyanûsekî ji te hez dikim.

## RECEP DİLDAR

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1958'an de li Bajarê Amedê hatiye dinyê. Dibistana Seretayî û Navendî li Amedê xwendiye. Xwendegeha Mamostetiyê li bajarê Kirşehirê di sala 1976'an de kuta kir. Piştî şeş salên mamostetiyê di navbera salên 1983 û 86'an de nêzî çar salan di Zîndana Amedê de girtî ma. Helbestên wî yên pêşî di sala 1983'yan de di kovara Dengê Kurdistan de weşiyane. Di rojnameya "Firat'ta Yaşam"ê de bi qasî du salan karê nivîskariyê kiriye. Helbest, çîrok û gotarên wî di gelek kovar û malperan de weşiyane. Di "Pêşbaziya Çîrokên Zarokan" ya ku d sala 2005'an de Şaredariya Sûrê ya Diyarbekirê li darxistibû, xelata yekemîntiyê, bi navê çîroka 'Şîno' wergirt. Ji bilî Dîwana Kewê Canê,Recep Dildar romana bi navê 'Dewran' a Seyit Alp wergerandiye Kurmancî.

Dildar li Amedê dijî, bavê çar zarokan e.

**Berhem:**

Kewê Canê,Weşanên Gun,2003

## XWEZÎ

Xwezî
Ji bajarên qilêr dûr bûma,
Li serê qotekî bilind
Bi lorîna bayê sibê
Di nav kulafekî koçerî de
Li benda zayîna rojê bûma.

Xwezî
Ji mejiyên qilêr dûr bûma,
Li nav daristanên keskesor
Li ser aveke zelal
Bi dengên teyr û tilûran
Li benda xewa şêrîn bûma.

Xwezî
Ji pereyên qilêr dûr bûma,
Li dora goleke şîn
Bi hevaltiya kuliyên berfê
Li dû Gulîsora xwe
Li meşa serê sibê bûma.

## AMEDYA

Dilopek ji hêsirên çavên te bû
Min bi serê rêyan xist,
Di deryaya diristanan de
Jar û pêxwas
Bi beza bayê re ketim pêşbaziyan,
Rastî frînekên naskirî dihatim
Rê li min dibirrîn
Dewran li min qelibî
Qamçiyên îxaneta reş şaqiyan
Li ser sînga min.

Dem û demsalan
Rehên xwe di bîrên bêbinî de veşartin
Rêvî tev gihîştin qonaxên xwe,
Ez hesreteke bi jan im
Li ser rêya te diperpitim,
Pêlên li hev diqelibin
Bi sebra teyrê sîmir
Bi dû keviyên te ketine,
Dilekî birîndar
Di nav sînga xwe de
Defa hewarê dilorîne,
Ne karê salan e,
Wê vê çîrokê
Dîrok binivîsîne
Amedya...

Rastî miriyan dihatim
Kirasên spî kiribûn al
Tevî sêdarên xwe dimeşiyan,
Axînên di dil de mayî
Dibûn topên bêdengiyê
Li ber bedenên te diteqiyan,
Lal bûbûn derwêş
Ji bo stranên dilşewat
Pêlik dikutan sînga ezman,
Lal bûbûn erbane
Bi cizbê diketin kevirên reş
Di malzarokan de pitik dihanîn îmanê,
Lal bûbûn dayikên porkur
Kezeb disincirandin
Li ber bayê bakur
Û
Li ber bircên bilind
Min xwêdana xwe
Bi gulebaranên qirêj paqij kir
Amedya...

Min bi rojê sond xwar
Li ser çiyayên bilind,
Min bi navê te sond xwar
Bi qewlê bav û kalan,
Ez ê çirayên xwe netefînim
Li kolanên stûxwar,
Bi kulîlkên dora kaniyan
Birînan derman dikim,
Lorîna dengê te ye

Min li piya dihêle,
Şewqa beşna te ye
Min ciwan dihêle,
Bihar bangî min dikin
Kel dide xwîna min,
Bi bîhna te jîndar in
Çivîkên ruhê min,
Min tacekê çêkir
Ji beybûnên dilê xwe
Ez ê li ser porê te deynim
Amedya...
Stêrkên ji porê te diweşin
Rêçên kadizan amade dikin
Ji bo simên zêrîn,
Hespên şînboz dibezin
Li zeviyên tije hêvî,
Bi alên agir dimeşin
Lehengên gurçikpola,
Keskesor dibiriqin
Di şevên reş û tarî de,
Tîrêj bangî min dikin
Kel dide xwîna min,
Ronahiyeke ji rengê te me
Bi bayêbezê li dû te me,
Di şefeqa sor û şîn de
Di zayina roja evîn de
Ez ê rûyê bi xêlî
Bi tîrêjên pîroz
Tewaf bikim
Amedya...

## RENGÊ ŞEVÊ

Gava
Siya şevê
Dikeve ser bajarê min,
Tariyeke cangiran
Çarlep xwe diavêje
Dilê dê û bavan.
Dem li xwe dilukume,
Di janê de asê dimîne.

Min jî dixwest,
Bi dengên dîlberên nazenîn
Şahiyên xemrevîn li dar xim.
Lê
Di bazara canfiroşan de
Însan bûne destê duyemîn,
Potînên reş
Şopên kurdewar digerînin.

Gava
Rengê şevê
Dikeve ser bajarê min,
Kuçe tevde kerr dibin.
Ecacokên tirsê
Di quncikên bixof de
Çaralî dibezin,
Dayik dikevin tatêla zayîna rojê.

Min jî dixwest,
Di awirên zeriyên lêvbiken de
Şevbuhêrkên bextewar bigerînim.
Lê
Çerxa felekê serûbin bûye
Ruhistîn simbêlan badidin
Li ser sîngên terûteze.

## HÊJA BİRÎNA MİN GERM E

Hêja birîna min germ e
Cixareyekê bipêçe,
Di nava dûmana wê de
Xeyalan bibezînim,
Ji bo vî canê jihevketî
Di quncikê dilê xwe de
Ava jiyanê bicivînim.

Çavxezala min jî ne li vir e ku
Bi çirîskên çavên wê
Birînan bikewînim.

Hêja birîna min germ e
Stranekê bibêje,
Di nava awazên wê de
Hesretan bihewînim,
Ji bo vî canê bê mirad
Di quncikê dilê xwe de
Aşê muhebetê bigerînim.

Gulîsora min jî ne li vir e ku
Bi serê biskên wê
Birînan bikewînim.

## TAVA HÎVÊ

Tava hîvê diçirise
Li bîbikên çavên te
Bêçare
Xwe diavêjim derya wan
Dixeriqim
Pê re diçim

Tava hîvê dibiriqe
Li ser porê hinekirî
Har dibin
Dirêj dibin dest û tilî
Diherikim
Pê re diçim

Tava hîvê gol bûye
Li ser lêvên xunavgirtî
Dilerizin
Xwe nagirin lêvên tî
Quruç dibim
Dixeniqim
Pê re diçim

# ZULKUF KİŞANAK:

## JÎNENÎGARÎ

Zulkuf KİŞANAK 1967 de dewa Kerteş a Sêwregi de ameyo dinya. Unîversîteyê Marmara de qismê Rayberî û Şêwirmendiya Psîkolojî (PDR) wendo. 1990 ra nata rojnamegeriye keno; hem bi tirkî û hem zî bi kurdkî (kirmanckî û kurmanckî) nuseno. Yew kitabê ey ziwanê tirkî de bi nameyê *Yitik Köyler* 2004 de hetê Weşanxaneyê Belge ra vejiyayo.

Zulkuf KİŞANAKî bi na şîîra xo (Delala Çimrengîne rê Qesîdeyî) serra 2004î de Musabeqeya 12. ya Şîîran a Hüseyin Çelebi de xelata yewine girewte. Nika berpirsiyarê kovara *Medlife* yo.

**Berhem:**
**Delala Çimrengîne re Qesîdeyî,Wş.Wate,2007**
**Tirkî**
**Yîtîk Koyler/Gundên Wenda,Wş.Belge,2004**

bêmaske bûn. Bi hev re dixwendin gorana felatiyê, xefîtiyên jiyana kambax bi hev re dianîne zimên. Çar keçikên poragir ên ku li herdû teniştên koroya nemiran sekinîbûn, bi senfoniya dilherik ya koroyê dest bi dîlanekê kiribûn. Dîlana wan wek pêlvedana êgir bû, bedena wan bi êgir fetil / fetil diqurifî. Bi dîlana xwe rih dabûne koroyê. Di destê keçikan de gulên rondikagir. Serhonazê koroyê wek dayikeke cegerşewitî, melûliya şerê felatiyê di nav birînên xwe ên nepak de derbas dikir û dixiste deng, dixiste hewarî bi hêrs. Li pişt serhonaz, koma muzîkjenan rêz dibû. Her muzîkjenek tim bala xwe dabû li ser amûra xwe û pê re ketibû têkiliyeke giran. Mirinê qut kiribû hewasa wan ya li ser amûra goranê, li wir bi kesereke nebihîstî amûrên xwe bi zimên dikirin. Xortekî bejinzirav hebù, wî kemanek dabû qeraxên sifet ù milan, lêdida, lêdida, lêdida û digirya. Di her têlên kemanê de keserek dipekiya. Wî xwe avêtibû şîpa kemana jiyanza. Hemû şadî û agahiyên xweşik dibûne helbestên diliniyê li ber guhê wî, dema ku sewta kemanê lêdiket. Xort di kûraniya goranê de winda dibû, serê xwe kiribû bin pîlê xwe û destê wî li ser kemanê wek brûskê diçû û dihat. Sewta goranê dişibî dilqê yarê, ew hildida dibir deştên rasteqînî car bi car. Bayekî bêmecal ji nav daristana goranê derdiket. Ev ba bayê Arzebayê bû. Bayê ku di dilê miriyan de bi şiyar nemirî mabû. Dengê kemana xort, tekûziyek dixist sewta koroya nemiran. Koro bi pêldana vê goranê dibû keserên bi xeml û helbestên mirinkuj. Hozan ù hunermend bi bagera ewrên vê koroyê dibûn çek û navdar. Koroya nemiran

dengê bêdengiyê dadixiste guhê me bi hewarî. Ew çemekî nerm bû, jiyan di xwe de hêşîn dikir wek avzêmekê. Belê koroya nemiran di dilê bindestan de ava bûbû. Sirf kesên bindset li pey mirovên xweşik kilam digotin, her ew bûn jibîrnekiribû têkoşîna wan ya xweşnas. Ji derya dil av vedixwarin dilqê miriyan. Ji rastiya hundirê bindestan jîndar dibûn miriyên xweşik. Li pêşiya koroyê giloveriyeke sor dixwiya, di giloveriyê de çar meşheleyên arbixêlî çirûsk / çirûsk gul vedidan. Dibûn mirov, dibûn ro, dibûn hemû dewlemendiyên jiyanê bi seranser. Wek peyvên dayikên dildax. Sewtên bi hetwan ji nav lêvan derdiçûn. Dibûn cûmek agir, dişibîn kulma Kawa yê gurzhelîn di nav agirekî kambax de li wir. Dibûn çar xortên bejinçiya, çar ciwanên qefesdir ku ji wan meşhele çêdibûn. Quwet didan dengê koroya xweşik. Koroya nemiran di çavên zindiyan de, di rihê bindestan de her tişt dîtibùn û çavên bindestan ji xwe re kiribûn neynikek rastî. Ev koro di dilê Biyad de hatibû afirandin. Koroyê tragedya Biyad seh kiribû û dest bi kilameke xemlemorî kir.

## BANGA KOROYÊ:

De bibihîze deng dikin em
Mirî sax in, zindî nemirî
Xeyalan biafirîne, bide hev herdû çavan
Dilqê me bibîne tu
Em di erdê hencirî de veşartî ne
Di birîna şervanekî de xwîna kel in em
Em giliyên li ser têla zimanê te ne
Qiyametên dizgînderizî dibînin
di nav kefa dilê te de
Qetyayî tu ji gelek dildariyên bêkêr
Li ser şirîta kesera te
çivîkên baskşikestî rêz / rêzî bûne
Hewara te bêdeng maye di nav nikulê wan de
Xwe bernede bayê şiyariyê bêhemd
Cer feleka dirantûj
kutane li ser riya te talûkeyên peyvtenî

Bawer nakin em, ku te text û payên yarê
ji dil û hinavên xwe avêtibe
Defa rizgariya îro xweş tê guhê te
Dibe ku serxweş bûyî tu bi vî dengê kewken
Em ê destûrê bidin te
vekin deriyan li pêş wan lingên xam
yên ku çiya û banî nedîtine
Em ê te bifroşin bayê Arzebayê
Di şerekî agirhelîn de, em ê
li benda şervaniya te bisekinin

Dema te dilberdanên biçûk
kirin şohleyekê û darda kir bi arîkên
evîniyên mezin de, em ê
di herikîna te de bibin bombeyên
felatiyê wê demê
Wê mirin bi senfoniya
me bê kuştin ricaf bi ricaf
Slav li te ey mîrê gumanê

## KOROYA NEMÎRAN

Koroya nemiran dest bi kilameke dilşewat kiribû, di vê kilamê de cejn û geşiya serîhildanan bi awazekî tarîqelêş bela dibû. Her mirovên koroyê, di nav kincên xwe ên sor de bi dengekî hewargazinî diqîriya. Kewa di nav milê wan de spî / spî awir diafirandin, gul di nav nikulê xwe de dikirin zimanê felatiyê. Koroya nemiran wek jiyaneke xefî li ser dilê Biyad kon kuta bû, li van herêman kambaxî xwe di vê koroyê de dida xuya kirin. Govenda felatiyê di hundirê Biyad de yek bi yek diqewimî ji nû ve. Serhonazê koroyê şivika di destê xwe de wek lezîna brûskê dihejand û li gor dengsaziya senfoniyê dixiste kemleke tekûz. Serhonaz bi bagera senfoniyê agirdilî dibû, bîso / bîso dişewitî. Di gorana koroyê de rastiyek hebû', rastiyeke wek kevirên seqî, wek baranê coşekar, wek rengê keskesorê xemil bi xemil. Koroya nemiran tîrêjên rastiyê di şibakeyên çavên Biyad de didît. Hemû kul û geşiyên qewimî di çemên dilê Biyad de şîn dibûn. Mereqên Biyad dibûn mijara senfoniya koroyê. Biyad bi hemû hebûna xwe bersiv ji xwezàyê, ji xwezaya bêmirov xwest. Ji nişkav de xweza hate zimên, axivîn bi dengê xwe ên taybetî. Dilê Biyad dîlbendî kir, bû berdevkê axaftina wan. Qala hemû serhildanan kirin bi sewteke çarînî ku giraniya keda bindestan tê de bijarte ye. Çiya hatin zimên, dubaskên cûrbecûr xwendin sitrana bagera felatiyê, riyên çiv bi çiv heleq / heleq şewitîn û qala piyên linçolan û birîndaran kirin. Çiyayên sîhbilind

xwe qure kirin bi mêvaniya şervanan, çiya awazên fena zengil barandin. Wek çemekî, wek lehiyeke bêdestkêş gazin û pesnên welatê xweybê ji Biyad re kirin, teyîsî şînzerya bi her dû çavan. Kelek û keştiyên dilê Biyad bû piştevanê van rastiyan û tevî senfoniya koroyê bûn. Bêhna barûdê, erdhejîna panzerên tekerxwîn, xişîniya marên dupê ên ku li ser çîmgehên pîroz birînên pelixî çêdikin. Bey ta deflêdana govenda bindestan ya ku hêviyê dike rastî, rastiyê dike jiyan ji vê senfoniyê dibeziya. Biyad bi rihekî pisporî neqişand di dilê xwe de ev koro, ev koro di hundirê Biyad de bû teqîneke felatiyê, bû bersiva tolhildanê, ko kir tirpana felekê bi bagera xwe. Li pey hev dirêjî bêdawîtiyê dibûn mirovên koroyê, gişka daxa mirinê li ser eniya xwe kiribûn kelayeke ku tu car ji bîr ve nebe. Di koroyê de li ser laşên her kesî teşqeleyeke mirina xiniz. Giş li benda Biyad bûn, nefesa Biyad ku nêzîkahî li felatiyê dikir cejneke bi pesin xwe berdida nav murxa koroyê, mirovên kincsor dilgeşî dibûn. Tama rizgariyê devê birîna wan pak dikir. Çavên Biyad ên kûr û zanyar awir pekandin li van herêmên bêdeng, li van deverên ku mirovahî lê pirtî / pirtî bûye. Keda felatîxwazan wek dilopên avê di bin baskên kulîlkên nexşereng de veşartî mabûn. Veşartî Ü di tarîtiyê de mabûn hestê serîrakirina bindestan di nav çêreyên welatê xeybê de. Çavên Biyad şahidî li kirinên gel dikirin, porê jinên meşkşw şirîteke d ûr Ü direj bÜ li pêşiya çavên Biyad. Garana koroyê her diçÜ bagereke zexm diafirand, hêza senfoniyê tragedya rizgariyê li ser lêvên Biyad dixiste qêrîneke tengezar û xewrev. Mirovên koroyê

kewên ku baskberdidan li asîmanan xistin. Kew azad bûn ji nişkav de li dor serên mirovên koroyê de, heleqên spî afirandin. Bi meqamên koroyê her çûn zivirîn li dar hev, helbest / helbest hestên xweşik niqutandin dilê kincsoran. Serhonazê koroyê serxweş bûbû, şivik ba dikir hemû bejna wî bi şivikê re dihejî, dilerizî. Ji nişkav de wek volqanekî dengdêw dilqê çaran hate xwiya kirin. Vêketin agir bi agir, agirê wan wek keskesorekî sehneya karoyê xiste nav dîmenekî bi neqş. Xortê kemangir keman danî ser milê xwe, bi dilekî tenik bi hundirekî dilşoşk û melûl, têlên kemanê da girîn, da jenîn û da kenîn bi serdanpê. Wî li kemana xwe da, keman tije bû ji bagera dilê xort, bagera dilê xort hemû hest û dilîniyên koroyê û çaran mijand sewta kemanê. Keman werimî, werimî bû meşkeke gazinkarê dew. Çaran ji giloveriya sor derneketin, di cihên xwe de kilamên bi agir kedîkirî xwendin. Ev xwendin wek kenekî, wek dilgeşiyekî xwe li rûçikê Biyad sût.

## ŞEHÎDA YEKEMÎN

Di dilê min de mirin, sawên reşqeratî
xêz nedikir, bêro dimam carinan
min şopa royê winda nedikir, li ser
zimanê min çend peyvên gulîmifte û
pisporê min bezîna berikên rêvekirbûn
Di zarotiya xwe de ey kulma koletiyê,
min tu helandî di nav şîrê dayika pîroz de
Bi kenê xwe ê qerqaş min tu
qewitandî li ser sormemikên têrbûnê
Li ser lêvên jîneza min nehîşt
tu bibî maçek qedexe, li hember te derketim,
bi gurz û mertalên zarokeke hevalcin
Min berê xwe da te ey bindestî

Ji ber bagera te heliya yek car
li jor hêlekana min moriya hêşîn ya nezerê
Ku mirov bibe zarok tu sirf ji bo xapînê
li deriyan didî, lê quweta te nagihê zarokan
dizanim, vir be bêje
Dizanim tu jî digerî li gor xwe mirovan
Divê bûk bi dilê zavê be, ma wisa nîn e
Belê divê kole li gor qinyata koledar be
Bê xwestin tu jî nabî zava
Wê çi kêrî te bê laşê zarokeke li benda şîr
Sirf xweşa te diçe ku bikî
dilqê jimeçêtiran û heya sibê bileyîzî bi me
di paşika dayikê de li berê dîwaran tu

Erê koledarî tu di nav xeyalên min
ên herî delal de wek dirikek jehrî bûyî
Lê ez wek keçikek di demên Mîr û Began de
zû min xwe ne spart te, li ber guhê min
xişxişkên rizgariyê senfonî kutabûn her wekî
Her wekî em nasbendê hevdû bûn
Di nav porê te de min didît çendî çend car
tenîtiyên mirinê, rehên rûçikê te qeydan / qeydan
xwe tûj dikirin, dilê tirsonek,
bi straneke xweşik aş dibû û ez diketim
xeyaleke spî heya serê sibehan
Heya serê sibehan tu dibûyî qerepere
Ne ez ji te re bûm yar, ne jî te devji min berda

Xwe neavêje qelaçeyên tarî, wisa bizanibe tu,
ez ji bo kuştina te hatime, han ji te re meydan
Tu mirinê bifroşe, ezê bi keleka
jiyanê derkevim pêşya te
Min tifinga xwe bi ava çavên
mi ri yan şûştiye, nericife tu destûr nadim te
Dizanim tê li min fenda bikî
Tê li pêşiya min teleyan ava bikî
Tê bibî agir bikevî devê bombeyên dilqelêş
Wê ji te girtîgeh bizên
Gerîneka huba me wê bi dirikên te
Çaralî bê girêdan serdanpê
Mirina me wê bi xiniziya te bibe şîneke giran
Tê bibi kesereke xapînok bikevî
qedeha dilê xwîşk û birayan her wekî

Naxwazim li ser mezelên miriyan
bibî guleke hêvîdiz tu
Koletî ez hatim li ku yî tu
Mêze bike dixwiye qet di neynika dilê min de
tirsa babezîn û sawdariya mirina kor
Mêzenakî tu koletiya destqirêj li mêrxasiya min
Nabînî ew sondên ku min xwarine û
her yek li ser pişta min bûne barekî giran
Ma qey val a ne ev sond, nafilitî
ji vî destî bila haya te ji te hebe her
Gunehê min li wistiyê te, li kêderê
ketime destê te ez, li min xemgînî nebe
Bipelixîne serê min bi gurzê xwe
Ji te re helal be, lê wisa jî zanibe ku
gay bi gavez jî li pey te me wek heyveşevê

Dilê min bilindahiya çiyan dixwaze
Sitûxwariya hemû gelan, hespa binê min
li arîkê asîmanan dixe, axîna bindestan,
tûj dike baskê min li eqarên Xwedê dixe
Hêrsa min li birekên çiyan dikevin
tûj dibin, tûj dibin awirê min di nav bezîna
bayekî tewanbar de bi êrîşkarî
Ez serhonaza felatiyê me, mirinê dikirim
Ji bo ku kedî bikim koletiyê, ji bo
liqayî rûçikê we yên bi qirêj û şermî bêm
û şemaqeke sewtbrûsk li sifetên we daynim,
wek daxa panzera ku li ser axa pîroz
birînan dinvîse

Tu jî dizanî lehengiya min ey sîha serdetsê
hemû sîhên di erdê de veşartî
Min tama mirinê di wan binçengên te ên
dojeh de hildaye, dema ku te ez avêtime
jêrekûrên baweriyên xwe,
dev ji min berdan hemû kevokên felatiyê
Li ser serê min beyteke koçeber kuxiya
û tamîş nedan li hember bêhna min a qirêj

Di wê hengê de bû penzewar şîrê dayika min
Bûn gurzê parastinê kenê min ên zaroktiyê
Tu li ser sînga min çok vedabûyî
Hindik mabû kon jî bikutî bêdestûr
Dengê şînê ez heşyar kirim, mirinên xweşik
ez avêtime deryayeke spî
Erdê vê herêmê bi zengila dilê xwe
kerika guhê min paqij kirin zû bi zû

Destpêkiribû şer dema ku rabûm
Şer erdhejînek çêkiribû
Dengê tifingan bêdengiya welatê min xera kiribû
Belê ref bi ref firyane çiyan em
Dibû berxwedan rizgarî di nav lepê me de
De bibêje ey kaletiya ku mirinê
di nav destmala xwe de wek zêrekî digerînî
De bêje, ka di çi rewşê de bûm
di henga berxwedanê de ez
Gela te şahidî kir li girînîn min
Di rûçikê min de qet rondikên lavakar
peyda dibûn, were zimên rast bibêje
Min bi çend awiran berî mirinê da
Ew şev ji me herduyan kî mir bi rastî

# MUSLİM ASLAN

## JÎNENÎGARÎ

Sala 1974ê de li gundê Hatxê hatiye dinyê.Ji ber karê bav yê li Şaredariyê,malbat li Nisêbînê bi cih dibe.Muslimê Zarok li Nisêbînê xwe weke koçberekî dibîne,û wan salan weha wedibêje:'Li vî bajorekekî me jiyaneke koçberî derbas dikir,seraqet me mala xwe diguhert. Ji vê, derdora min a mal û dibistanê jî dihat guhertin. Ji bo min dibistan zimanekî biyanî û derûdoreke nenas bû. Tişta herî pê kêfxweş dibûm ew bû, ku me bi libên fasûliyan nivîs dinivîsand.'

Navçeya ku bûye 'warê'Muslim nekare wî ji gund dûr bixe; bi gotina wî,'giyanê wî, seraqet dibeze ber bi zevî û sîdarê gundê wî de. Ew bi pirtukên bapîrê xwe re li helbestê rast tê:Bapîrê wî pirtukên Cegerxwîn derdixe û dide destên wî. Tiştekî ji wan fêm nake, lê bapîrê xwe sermest dike.Wisa bi bîr tîne wan rojan:'Ez bi qîmetdayina bi min pir kêxweş dibum. Lê ev kêfxweşî herdem nîvco dima;bapîrê min careke din pirtukên xwe dixistin veşartekan…'

Muslim Aslan,di sala 1990î de bi awayekî aktîf beşdarî tekoşîna siyasî dibe.Yanî hildikişe çiyê.Di biwarê helbesta xwe de,xwe weha vedibêje:

'Helbestê min her çendî ji min jî bin, ji min afiribin jî ew li pêşiya min meşiyan. Di jiyana min î çiyan de hêşîn bûn û di 10 salên di zindanê de bi kok bûn, berg girtin.

Pahrek mezin a jiyana min di nav tevgera rêxistinê de bi kar û barê çapemeniyê derbas bû.Helbesta min, cara yekem di kowara HAWAR'ê ya ku me li Zindana Amedê derdixist de hat weşandin.

Aslan piştî ku ji hepsê derdikeve demeke dûdirêj di rêveberiya kowara ÛTOPYA de cih digre.

Û weke pirên nivîskar û helbestkarên Bakûrî ew jî bi tirkî dest bi serencama nivîsê dike.

Lê di demeke kin de li xwe diwarqile,dadigere ser kaniya zimanê xwe…

Helbestên Aslan wek dîwan çap nebûne.

## SÎ

Gûl siya xweşikbûna te
Lê gul tucarî
Nebûn siya xweşikbûn a te

## Xeydokê

Dengekî gewr herikî ji qermiçokê aniya pela
Bê pirs te deriyê jiyan amin girt
Bê pirs bê xatir
Mîna tenêtiya te mame
Xemgîniya min dawa xeydokiya te dikşîne
Te dengê xwe veşart û çû
Ji xwere di bêjim ji xwere gûhdar dikim

Helbesta te a çavzarok
Û strana çûka li cem min ma

Xeydok
Bê sûcim
Xweliya emrê min têxe nava tiliyê xwe
Bişo bi çola kerbela serê min
Tê bibîne ez bê sûcim
Ji nava derewa daweşandî hatim

# HİV-A

Lepê ewrê bi xwinî radike
Qaqilkê birîna xewa min
Ditirsin hêvî di stargeha demên kûr
Hiv-a
Li Tenêtiyeke bê lêv de bê dil mam
Ma ne bese li ber çahvê min kuştina min
Her şev sterkek dikeve behra hêrsê min
Ji veqetandina te bi vê de
Bum namek di geremola tembîha de
Niqta gaziyê min jî windaye hiv-a
Ma ne bese hiv-a
Bi hêle
Ku tenêti li ser min bigri hiv-a

## Şikestim

Wa bayê kevin ji zûve ez hilgirtim
Min wênek danî ser şopa fira kevoka
Ew xewnê zarokî mezin di bûn
Min hez rûyê xweyî herî nexweşik jî dikir
Evîna çavê xwe digirt ji sûncê min ê herî xayîn
Şikestim ba hilgirt

Ew berbangê dûr û bi şewq
Şina min di girt bi stranek kelogirî
Zû dişkêm min bigre
Carek din nayêm cihanê
Naghêm jiyanê
Şikestim…

## Silav

Va roj derket
Min silavek berda kolanê birîn qaqilk negirtî
Rûyê bê mirin
Bîraninê nêvcî bi jan avdayî
Bi hefsarê bayekî dîn digrim xwe berdidim
Bi kûdê herîm
Li şopa silavekê jîn bê dizîn jî ne xeme

Xerîbiye navê silavê
Bi tiliyê kêrek tûj digere li laşê min
Ma te ez bîhistim li dojeha hewarade
Name li ser çiya hin tev bi xwînî
Di pirsim qêrînê çema meteloka vedide li ber min
Pirsê min bêhn çikyayî ser datine milê min

Ji te dûr bi bê navitiyê şadibim
Ji xerîbiya xwe
Bi bê dengiya xweyî bê kesre dimînim
Silav
Silav
Silav
Mate ez bihistim

Te di got
Hez sipî bike
Xwe li ser pira reşahiyê bi parêze
Te di got

Bi hêrsê xwe nemijîne agirê bê ar
Te di got ji tofanê kedîkirî bi tirse
Te di got…

Ji te dûr
Nêzîkî te ji dengê te kêm
Lê her sibeh xwe gorî hesreta te dikim

Ma tu zani dûrahî çiqas axîn berda destê min
Çiqas çem te ji minre nebêjin
Disa bi serma tehta kû li eniya diçûrise dinerim
Nameyekê seran ser bi silav dihêlim ji tere

Ez hin hez sipî dikim
Xwe diparêzim ji reşahiye
Şîn kêm nabe ji zimanê min

Silav
Silav
Silav
Min bibîhize

## Minakparov

Hêlîna a hêrsê çavan, çûkek baskok
Kêr bêîman e lê bi ziman
Qîrkirin sergêj e lê dîrok bihiş e
Hidûdê nivîsa eniyê ye rêzkirina laşa
Xefk vedanê roja nuh zayinê
Wê tim deynê me giran bike
Û razayî bimîne xeta şermê li navbera nêzîkatiyê
Minakparov…(*)
Minakparov ji guhê me dernakeve

***-Di dema gelkujiya ermeniyan de dema ermenî direvîn digotin "minakparov" ango "bi xatirê we!"***

## BİSEKİN

Xewa bê ziman
Navê xwe sipart baweriya sebrê
Bi xatirê çav li dawî kêm mam
Tune ye bextê poşmaniyê çi bêjim
Rûgeşî xwe ji serî nagire
Dijwarî diyariya jiyanê ye

Bisekin
Va ez hatim qetla biyaniyê
Li destmala silava spî xwe bipêçim
Ramûsanek deynim germa dilê zelal
Ji bîr neke seknê
Bi sonda hatinê ez bêriya te dikim
Bisekin

# GORA Lİ NAV STÊRKA

Gera min ji stiriyê bêbextiyê bi xwînî
Qaqilkê salan ji cemidandina bedenê mîn bê fêde
Diricifîm…
Stargeha min germa hêsrê dayîka min
Dolmendiymîn şerma min
Lê.. min mecbûri dizektiya emrê minminîka dikir
Te tembîh dikir
-ya mîna rengê nergiza-

Ji hesretate dojeh dinuqûtîn ji mijankê min
Bala xwe li baneşana bihêle
Dûr dinîvisînim
Nêzîk bang dikim
Tû mina rûpelekî kete nav herka bîranina
Ditirsim
Hîn kû tu negîhaştiye mîn
Li bin stêrka hatibim veşartin

## Mifte

*Sermeyek har xwîna min dimije*
Ka ew agirê mûmê
Bêdengî diherikand çîroka helbesta
Agir nesebê mûmê heland
Ez bi çirûskê êşa xwe ronî dikim riyê xwe
Tim di bîra min dene hêviyê bêhn sêv
Gelo ez mezinim yan Hêvîviya min
Hêviyê min dayîka xewna
Çima... Di himbêza xweda cîh nade min

Destê tariyek dîn û lal di qirika min de
Ez li te digerim
Wa tû dibêjî ez ne li ezmanim
Di nav ax û stêrka aliqî
Weke pirekê
Weke wêneyekî kevn
Hewarê min ji eynika ewra dişemitin
Ji xwere dibe mûm
Hêsrê min jî agir
Nêzîkayî li cem min mir
Ka mifta bersîva bide min
Her tiştê min di sindoqa nalîna bergehêde
Ka miftê bersîva bide min Jan...

## AYDİN ORAK

### JÎNENÎG
### ArÎ

Aydin Orak, di sala 1982'an de li Nisêbînê ku girêdayî Mêrdînê ye hatiye ser rûyê erdê. Dibistana sereteyî û ya navîn li Nisêbînê diqedîne.Niha di ZANİNGEHA ANATOLYA- BEŞA CİVAKÎ de perwerdeya xwe berdewam dike. Di sala 1997'an de dest bi karê şanoyê dike. Di sala 2000'an de tevlî şanoya NÇM ( Navenda Çanda Mezopotamya ) dibe. Di çend lîstikên cûr bi cûr de dilîze. Di lîstika bi navê Prometheusê Zincîrkirî, Kar û Bêkar, Girav, Sala nû Hinek Zû û lîstika Teatra Avestayê ku hîn jî berdewam dike "Rojnivîska Dînekî" de dileyîze. Di Ozgur Gundem, Azadiya Welat, Ozgur politika, Esmer, Londra Olay Gazetesi û Amîgra de nivîsê çand û hûnerî, bi taybetî jî nivîsên şanoyî dinivîse. Çend werger kirine weke; Gogol- Rojnivîska Dînekî, Musa Dînç- Ji Serê Zînde Peyvên Didin Fikirîn, Yaşar Kemal- Teneke.

Orak,di sala 2004'an de di fîlmê ku derhêneriya wê Ahmet Soner kiriye "Perwane", û çend fîlmên bi tirkî weke serlîstikvan dileyize.

Aydin Orak li Stenbolê li "Navenda Perwerdeya Gel-Beşa Lîstikvaniyê" qedandiye. Orak, niha jî di Teatra Avesta ya ku wî û çend hevalên xwe damezirandine de lîstikvaniyê dike û li Navenda Çanda Arzela perwerdeya lîstikvaniyê dide…

**Berhem:**

Hestên Veşartî,Weşanên Berçem, 2005

## ZAROK

Min zarokek dît
Li zagrosan li dîroka xwe digeriya bêrawest.
Min zarokek dît
Li birayê xwe yê pişta xetê dinêrî bi hesret.

Min zarokek dît
Qîr qîr qêriya lê dengê wî nedihate guhê min.
Min zarokek dît
Ji bo zarokatiya xwe ya ku qet ne jiyaye digirî.

Min zarokek dît
Li ser lîstikên xwe yên ku qet bi wan ne lîstibû digirî.
Min zarokek dît
Qet ne dikenî ji ber ku ji bîr kiribû ken.
Min zarokek dît
Êdî hêstir ne dibariyan ji çavên wî
Di şûna hêstiran de xwîn dihat ji çavên wî.

Min zarokek dît
Xwediyê pirsgirêkên balkêş bû
Weke çarenûsa min.

Min zarokek dît
Digirî, lê hêstir ji çavên min dibarîn.
Min zarokek dît
Li ser berfê ling tazî bû, lê min sar bû.
Min zarokek dît

Di sînorê dilê min de pêl mayinan dikir, ez perçe dibûm.
Min zarokek dît
Agir bi bedena xwe ve dikir, lê ez dişewitîm bi qîjeqîj.

Min zarokek dît
Jiyana wî jiyana min bû
Ji ber ku min xwe di çavên wî zarokî de didît
Ew çav jî… çavên min bûn.

## RAMÛSANÊN QEDEXE

Di rojên qedexe yên derketina kûçeyan de
Bi meherkên qetiyayî di reşên şevan de
Ji mijankên te û lêvên şermok
Bêzagon û bêqedexe
Xweşbûn
Başbûn
Ramûsan
Ango! Min standin ramûsan bi barê hespan.

Bêrawest im li rawestgehên te
Kelehên sîngên te hidûdên namûsê ne
Ji tiliyên lingan heta porê seran
Ramûsanên qedexene
Weke mirin û jiyanê.
Dîwarên kevirîne ramûsanên te
Tilîlî kêm nabin ji dîlanên te.
Dilê te yê hesinî bi zincîr e
Siya xençerê pir kûr e.
Girêdayîne ramûsanên te bi têlên direhî
Êsîr in di nav mahkumên reşik de
Veşarîne ramûsan di lêvên te yên qedexe de.

## DİLOPEK HÊSTİR

Ji bo te
Ez bûm ax û kevir di bin cotê beyar de
Bûm teyr û firiyam çûm çiyayê herî bilind.

Ez bûm pelekî hişk û ji çiqlê dara xwe ketim
Ku mizgîniya zivistanê didim.
Bûm qaqlîbaz ji welatekî koç dikim
Diçim welatekî din.

Ez bûm agir û dilan dişewitînim
Bûm bi hezaran stêrk
Êdî heyv jî hostayê min e.

Bûm derya û dinyayê di bin avê de dihêlim
Bûm pirpirînk û yek bi yek li ser kulîlkan digerim
Ker dibim
Kor dibim
Lal dibim
Şev û roj ji min re dibin yek
Vê yekê bizanibe ji bo te, tenê ji bo te...

Dilopek hêstirim dikevim ji çavên te
Dibim baran û dibarim hûr hûr
Li ser deşt û newal û gulîstanan
Kulîlkên sor diçînim ji bo te.
Ji bo te bûm çîrok û ketim dilê dîrokê

## LÊGERÎNA BÊBERSİV

Lêgerîn bê bersiv ma di dîtina te de
Wek derewên bê sînor.
Çalakiya mezin di gewriya te de aramiye ji min re.
Evîna rojhilatiye li girekî dûr
Goristana min a wenda.

Di bejayiya jiyanê de masî me
Berî nivîsara dîrokê.
Dilopek hêstirê şewitî lehiya herî mezin e
Ji bo dilê arpêketî.

Rojnivîska min a bi hezaran rûpel
Jiyana min a vala ye.
Pênûsan bidin ku wêneyê tenêtiyê çêbikim
Bi rupelên spî.
Ji mijankan çêdikim qesrên nêrînan
Ji birhan çêdikim kelehên dîtinan
Ji çavan çêdikim bajarên zarokên bêkes.

## AGIRBANÛ

Îşev heta sibê
Li ser welatê Ariyan
Ji esmanan
Nameyên berfê dibariyan

Devdevî sibê
Agirê adarê
Mîna bûka biharê
Xwe xemiland
Û berê xwe da
Ber bi qada pakrewanên
Bi nav û deng û bi huner û çand

Karker û girtî
Zar û zêçên birçî û tî
Daristan û gundên şewitî
Û hemû penaber û koçberên qewitî
Di asoyê de qor bûn
Bi ramûsanên şêrîn û çepikên gir
Ketin şopa bûka baranê
Herikîn serbajarê êgir

Bûka biharê
Roja bîst û yekê adarê
Ligel temaşevan û guhdarê xwe
Derket hizûra paqrewanan

Wan jî wiha got:
-Bûka biharê
Ji vê êvarê şûn de
Bila navê te yê nu
Bibe Agirbanû

## ŞEVÊN FERMÎ

Dema şev
Nola gurekî birçî
Tê mêwaniya dilê min
Mîna pezê nîvxeniqî
Dikevin rêzê

Û çi qas moz û kêzên
Tirsonek û veciniqî hene
Dibin hirç û berazên
Cendekên min ê ji kêm û xwînê

Dema şev
Nola hûtekî bêhefsar û heftserî
Tê mêwaniya dilê min ê bê şibake û bêderî
Hemû şaneyên min ên serserî
Bi nokerî
Ji êş û janên kul û birînên min re
Dibin parî û kerî

Di wê dema
Dufelqe û rûqame de
Tu, hi teşiya aramiyê
Xeweke hê sî
Ji min re dirêsî
Ez jî dilê xwe yê
Mina qaxên xwînê
Ji nava devê

Gur û hûtên şevê dikşînim
Bi aveke nerm û şêrîn dihişirînim
Nola guhareke zêrîn
Û wek xelateke hi wate
Bi dizî dikim destê te

## PÊDIVIYA TAZÎ

Bila tu kes xwe nexapîne
Ji şîrê derew
Çi mast çê dibe, çi dew
Sedemên vê yekê sisê ne
Meşka rûreş, haveyna xerab, ava bê xwê

Bila tu kes xwe nexapîne
Ji sewalên nekedî
Çi rêz tê hêvîkirin, çi fedî
Hevalên vê xeletiyê jî sisê ne
Bêşîr, bêxwîn, bêxwedî
Bila tu kes xwe nexapîne
Bi lingê xasî
Çi rêwitî dibe, çi mêrxasî
Adana vê gotinê jî sisê ne
Hevirê tirş, arvanê xilt, nanê tisî

Bila tu kes xwe nexapîne
Ji axa bêpakrewan
Çi dara azadiyê diafire, çi kulilkê bi guhan
Dijberê vê yekê ji sisê ne
Kimê, miratxwir, mijokvan
Ji peymanên nedadî
Çi aramî bi dest dikeve, çi azadî
Bila tu kes xwe nexapîne
Kiryarên vê yekê jî sisê ne
Tirk,Ecem û Erebên bêfedî

# MlN XEMSAR NEKE

Ez avake tazî me şermokim zîzim
Di heman demê de
Xizan im, belengaz im
Min di nava bijangê xwe de veşêre
Bila neqefilim, nelerizim

Ez erdekî rûtim
Heta îro tu kesekî ez najotim
Dirûnkerekî kor
Bi mistek esmanekî re ez dirûtim
Bêbehn û hilm hiştim
Barê min tengasî û zîzî ye
Min di deleva çavê xwe de veşêre
Bila cemeda tariya min biderize

Ez dareke birîndar im
Bê kulilk û bê bihar im
Nalîna min di koka min de pûç kirine
Tamarê min dizîne
Silavekê ji min rebişîne
Bila mîna erdhejekî min bihejîne

Ez agirekî bê dû me
Şewata ducanî ya min
Ji Beriya Zayinê heta îro didome
Nav û dengê min
Wek ala dîrokê bilind û berz e
Min di nava nasnameya min de veşêre
Bila beyî te kesek min neparêze

# BÊRÎ

Keçê ajê
Gûne te mina berfa gelawêjê
Sivik û nerm bû
Ger rojê, xwe di dilê te de veneşartibû
Xwîna te çima ev qas germ bû

Ajê
Stêrka gelawêjê
Em çi qas ji hev dûr bin jî
Raman û hestê me yên mina tirêjên rojê
Li hev neşibin jî
Ez jî kurdim, tu jî
Heke tu dixwazî kurdayetî ya xwe bijî
Zû were
Bila êş û jana dijmin
Li ber deriyê dilê min negere
Dem girîng nîn e
Dema tu hatî
Ji min re çend kaxizên nola gunê te
Û pênûseke jêhatî bîne
Ezê wê rojê bi wê pênûs û kaxizê
Şewatek hezar salî derbixim
Bila tajan bikeve dilê tariyê
Ronahî bikeve argûnê te

Ajê
Xwîna min
Li bin lingê te birije ku
Derewa nakim
Lewre ez xakim
Xakek pir pîr
Tujî ajî
Ajek çeleng û jîr
Ji bîr neke
Gazinca min neheneke
Û daxwaza dilê min ê çar parçe
Bes miftehek e
Ew jî, ji bo min
Hem çek e, hem wêrek e
Lê di destê tirsa tarî de ye
Û der û dora wê tije moz û kêzin
Heke tu mifteha mezin neynî
Çi ez dibim mem, çi jî tu dibî zîn.

## BIRCÊN GIYANA MIN

Çi ax, çi gûr
Tew tiştek qasî hiş birçî nîn e
Raza vî reqesek grînge
Çiqas dide, ev qas distîne

Çistêrk, çieznnan
Tew tiştek qasî çav mezin nîn e
Li çi binêre, zû zû bîr nake
Lê tû car xwe nabîne

Çi morî çi mêş.
Tew tiştek qasî dil kedkar nîn e
Ew serbajarê jiyanê yê
Karker û cotkar nîn e
Çi şûr çi kêr
Tew tiştek qasî ziman tûj nîn e
Her wekî birîna wê kûr e
Lê mar, sîxûr û birakûj nîn e

Çi hingiv çi şekir
Tew tiştek qasî can şêrîn nîn e
Lê ew çêj di nava mirinê de veşartiye
Bê pakrewanan kes nikare wê bibişirîne

Çi dar çi kevir
Tew tiştek qasî mirinê tenê nîn e
Dema destê xwe ji me dişo
Çi dikûlime, çi digrî, çi dikene

Çi kîn çi jehr
Tew tiştek qasî tariyê qirêj nîn e
Ew kortiyê, si'yê qîr e
Mîna ronahiyê fireh û bi çêj nîn e

Çi dirav çi zêr
Tew tiştek qasî ronahiyê bi rûmet nîn e
Çavkaniya wê rehjenên rojê yê
Mîna Dîcle û Ferat a bê kek û et nîn e.

## ŞÎRET

Di van êvarên dawîn de
Her hêsirê min
Di berbanga çavê min de
Dibe dûvstêrkek xeyidî
Dema roj hildide
Ez berê xwe didim şeveke din
Ew li pey min hêdî hêdî

Di van êvarên dawîn de
Her hêsirê min
Di bendava çavê min de
Dibe masiyekî birîndar
Dilê van ji bo zertavê davê
Yê min sewa mifteha çar warên bê êvar

Di van êvarên dawîn de
Her hêsirê min
Di zeryaya çavê min de
Dibe giraveke agirî
Dema tarî difetise
Ji wê giravê sewtek tê
Dibêje: tû çima nabî baran
Çima li ser min nabarî

## HEVGIRTIN

Zilma bi şewat
Mîna tariya kar, bi şev hat
Lê belê bi tenê nebû
Li gel melkemotekî dest bi hinê bû
Mîrata mîrat...

Wê şevê
Heta diyarbûna rojevê
Tew tîrejekî gay navêt
Berbanga welat
Di dawiyê de peyama reş wiha belav bû:
"roj berevajî hilat
Fermandar, cendirmeyê dinê yê
Fermanber: mîrata mîrat...

Agahiya bobelat
Bê sewm û selat hatibû
Girava mij celşd ...
Li aliyekî benên bi rûn belav dibûn
Li aliyekî bi hezaran xelat...
Piştre, dad û sêdar li hev hat dadger
Û dozger bû neynûk û goşt parêzer:
Mîrata mîrat…

## MIN BIBIHÎZE

Di van danên dawîn de
Di xetêti eniya min de
Hinek dilopên xefilî
Mîna zîpîkên bi lome û gilî
Dişemitin çavê min ê teng û zelûlî

Beke tu kewaniyê
Û navê te Arjîn e
Car caran were mêwaniyê
Van lome û giliyên
Nola bêçî û tiliyên êvara îniyê
Ji çavê min derxe
Bi destê xwe birijîne

Di van danên bêdesmêj û bênimêj de
Di nava ramanên min ê gêj û qirêj de
Deqqeyên bi tirkî, erebî û farisî
Tê mêwantiya xewnê min ên qerisî

Heke tu kewaniyê
Û navê te Arjîn e
Yek caran were mêwaniyê
Wan cin û cinawiran
Ji baweriya min re neke cîran
Nepejirîne ...

Hevrêya min
Di van danên
Mîna av û nanên tenêbûn û tûnebûnê de
Barê min ê veşartî, xwîn û tirs e
Û bilî dilê min
Tu kes rewşa wan napirse

Heke tu kewaniyê
Û navê te jî, Arjîne
Êdî were
Gend û gemariya barê min paqij bike
Di devê tenêbûn Û tûnebûna min de birijîne

## MIRIN

Şev bû ...
Reşî û tarî tevhevbû
Tiştekî li derî yê dilê min xist
Bêdengî bû
Ne xew bû

Şev bû
Xof û tirs tevhevbû
Nalînek di gûhê min de herikî
Ba nebû, rev bû

Şev bû
Şaşî û xeletî tevhevbû
Ez li benda xewê bûm
Yê berê xewê hat Ewbû...

# EYYEZDAN

Bêyî min tu kes nizane.
Dilê min çima bi du can e.
De bibêje!
Tu yê pîriktiyê bikî
An salên li paş min mane?

Bêyî min tew kesek nizane.
Dilê min çima bijan e?
De bibêje!
Min heftê û heft sal kevn kirin,
Ên min nû bikin kijan e?

Bêyî min qet kesek nizane.
Van mûyên canê min,
Çima mîna moz û kêzan e
De bibêje!
Zayîna min a dubare kengî ye,
Bêyî te kî zane?

# DİLBÊZARÊ BÊKES

## JÎNENÎGARÎ

Di sala 1947'an de li dorhêla Belîsê hate dinyayê. Piştî xwendina medreseyê, ji bo xwendina latînî lîse kuta kir. Di gelek sazî û dezgehên dewletê de kar û barên cuda hilgirt ser milên xwe.

Demek li derveyî welêt kar kir.

Ji helbestên vê dîwanê kasethatin tomarkirin. "Dîwana Dilbêzarê Bêkes" yekem berhema nivîskêr e.

## MALA DILÊ MIN AVA BE

Ey dil mala te ava be
Bes e ji vê xewê rabe
Ev halê te dê çawa be?
Dijminê te pir xerab e
Were tu bi wî nexape
Ew dijmin li te siwar be
Nayê xwar get peya nabe
Nebêje ev çi hesab e
Bizane wekî nehsan be
Tu ne kêm û ne noqsan be
Hem ne li pê wan dewsan be
Ji bo welat baş insan be
Xwedî lîsan û ziman be
Dê zimanê te winda be
Bê ziman derî venabe
Tu zimanê xwe hîra be
Di tariyê ve çira be
Lewma bê ronayî nabe
Wekê ronayê tu hilbe
Bila bêkinc û bêcil be
Dawiya umrê me tirb e
Bila dijmin ji me sil be
Ey dilo were zana be
Ji nezaniyê tişt nabe
Ev tişta han bê pişt nabe
Ji bo welat piştevan be
Tu ne aliyê xiştan be

Piştevanê van tiştan be
Divê sar be zivistan be
Tu bi mêhla Kurdistan be
Herdem ne li bin destan be
Tu evîndarê dostan be
Were şagirtê hostan be
Ber piyan ne wek postan be
Herdem sadiqê dostan be
Wekê piling û şêran be
Herdem bi terzê mêran be
Ev gotin ji bo xêran be
Dilbêzar Bêkes heyran be

## FELEKA XAYÎN

Felek ji me re xayîn e
Agir li me dibarîne
Gundên me dişewitîne
Em bêmal û bêxanî ne
Zarok bê xwarin birçî ne
Di nav davîka sinçî ne
Dilê min kul û birîn e
Cebar min nacebirîne
Herdem karê min girîn e
Felek kor e qet nabîne
Jiyana dinê şîrîn e
Lê ew qet ji bo me nîn e
Sebeb nezan e pir dîn e
Me digire direvîne
Em ketin ew me hilnayne
Li ber piyan dibe tîne
Ber piyan em perçiqîne
Em bi hewar û gazî ne
Ew dijmin me dixapîne
Paşî dê bixeniqîne
Dilê me herdem xemgîn e
Dijminê me pir zengîn e
Em bi zîn ve wek zengû ne
Zîn li ser pişta me'în e
Ew siwar e dilezîne
Kes ji bo me nebezîne

## HAL Û KARÊ ME

Ev çi hal e ev çi kar e
Me ne zozan e ne war e
Me ne pez e ne dewar e
Me ne endam ne mixtar e
Li pişta me giranbar e
Her der şewitî nav ar e
Li me qêrîn û hewar e
Dijminê me wekî mar e
Difetile pir xedar e
Ew bêbext û bê qerar e
Ji bo me dike zerar e
Dereng e îro êvar e
Me ne gund e ne bajar e
Ne baxçe ye ne tu dar e
Ne havîn e ne bahar e
Zivistan e hewa sar e
Dijminê me pir dijwar e
Ber me qelizî her car e
Xezeb ser me de dibare
Wiha çend sal e çend car e
Welatê me birîndar e
Ew li bin destê neyar e
Dilê min tev elemdar e
Dijminê me pir şiyar e
Wek me ne benda bahar e
Her car li ser hal û kar e
Çend milyon e çend hezar e

Dil wek gula nav beyar e
Benda barana bahar e
Baharê baran bibare
Dê ew gul bide ajar e
Bilbil bike zarezar e
Lewma ji gul hesretdar e
Bilbil bê gul qet nikare
Bê gul bilbil herdem jar e
Helaye berfa nizar e
Dostê min tirb û mezar e
Ev gotina Dilbêzar e

## WELATÊ MIN XERABE YE

Welatê min ne ava ye
Wekî bûka bêzava ye
Herdem nav kul û cefa ye
Berfa çiyan tev hela ye
Li nav golan av ceva ye
Lê ew av tev bereday e
Li nav welat kes nemaye
Welatê me tev vala ye
Me ne feqî ne mela ye
Nizanim ev çi ewa ye
Ev çi derd e çi bela ye
Ji kezebê xwîn pala ye
Cîgera min tev pija ye
Ji dilê min xwîn rija ye
Kes xwe cih de tev nedaye
Dibêjin emrê Xweda ye
Lewma xebat ne qedaye
Ji bo Xweda canfeda ye
Lê ev gotin bereday e
Ji bo Xweda ne rewa ye
Malê me li ber hewa ye
Rêça me ji ber hev qetaye
Sikra me li ber wan tewa ye
Halê tembelan wiha ye
Wextê xebatê niha ye
Ne dûr nîzik e li ha ye
Xebat ne tiştek biha ye

Dijminê me pir nehwa ye
Ji bo me ew bêwefa ye
Tirsonek e lê sehwa ye
Delal nav zindan raza ya
Çi zindan e çi ceza ye
Ji bo Xweda bêriza ye
Dilbêzar go ev wiha ye

## AX DINYAYÊ WAX DINYAYÊ

Ax dinyayê wax dinyayê
Beredayê bêwefayê
Çima ji me re baş nayê?
Te li me agir berdayê
Pêta wî daye ber bayê
Hewara me re kes nayê
Kuvîxezal nayê rayê
Nîçîrvan gulek berdayê
Ji derpa gulan xwîn nayê
Em belav bûn ber vê bayê
Yek yek wekî zilê kayê
Baran barî av berdayê
Tavî borîn tavê dayê
Bin destê zalim paşayê
Herdem nav kul û cefayê
Bê cih stara me nayê
Em direvin ji belayê
Nivişt çêkir wî melayê
Ew nivişt jî li me nayê
Wî melayî nexwendayê
Ji bo xwe daye fetwayê
Tirsa wî serdest axayê
Van niviştan çêkir dayê
Wî melayê beredayê
Xweda eqil qet nedayê
Dijminekî eqil dayê
Ew ketiye ber wê bayê

Aliyê xwe ve qet nayê
Zanim nabe vê ewayê
Lê ji destê min tu nayê
Emir borî wekî bayê
Sebra Dilbêzar qet nayê

## DILÊ MIN

Dilê min Gola Wanê ye
Qerewilê vê xanê ye
Dil li nav kul û janê ye
Tu xerîb î lo dilê min

Dilê min dilek xerîb e
Bê miraz û bê nesîb e
Birîndar e bê tebîb e
Tu evîndar î dilê min

Dil dilekî evîndar e
Lê dil bê dost û bê yar e
Lewma bin destê neyar e
Tu qeherkêş î dilê min

Dil dilekî qeherkêş e
Her dem nav kulan û êş e
Dil kul û derdan dikêşe
Tu delal î lo dilê min

Dilê min dilek delal e
Li vê dinê bê heval e
Ji bê kekesiyê dinale
Tu reben î lo dilê min

Dilê min dilek reben e
Zarok hêj piçûk, gede ne
Birîndar in cengzede ne
Tu ne hêja yî dilê min

Dilê min dilek hêja ye
Ji van derdan pir pija ye
Kelijiye tev rijaye
Tu birîndar î dilê min

Dilê min dilek birîn e
Welat ji bo min pir şîrîn e
Karê min şîn û girîn e
Tu nezanî lo dilê min

Dilê min dilek nezane
Bê guhdariya we'zane
Mixabin em tev razane
Tu bê awazî dilê min

Dil bê awaz û bê qêr e
We'zan dide lê bê xêr e
Wan birçiyan nake têr e
Tu belengaz î dilê min

Dil dilekî belengaz e
Beriya min li evraz e
Dijmin li pê min dibaze
Tu nazik î lo dilê min

Dilê min dilek nazike
Ji min dûr e ne nêzik e
Nizane zimanê zik e
Tu rehber î lo dilê min

## ZEKÎ KAYAR

### JÎNENÎGARÎ

Di sala 197'yan de li Dihê ji dayîk bûye. Piştî heyştsaliya xwe li medreseyê dest bi xwendina Erebî dike. Di vê demê de bi tenê dibistana seretayî xilas dike. Heft sal, bi zimanê Erebî,
di medreseyê de perwerdeya olî dibîne. Paşê, bawernameya meletiyê distîne.

Çar salan meletiyê dike. Di sala 199'yan de tê girtin û hê jî di girtîgehê de ye!..

# AVZÊMA HESTÊN MERLTÎ

Oemsaleke din jî bêyî te derbas bû
Her ku diçe cîhan li min teng dibe
Û jiyan li ber çavê min reş dibe
Belkî jî dilewute
Û diherime ...
Bi geşbûna kulîlkên biharê re
Avzêma hestên meritî
Bi lehiya xweziyên bitir de
Qefesa banimaya lawaz pengivand
Û hindik ma ku
Dilê nepeniyên mahrem
Ji sînga warê evînê derkeve
Û hemû xiyalên dahatûya zipziwa
Di bin mewcên bendava teqiyayî de
Bimînim ...

Lava dikim can
Bi koça mina dawîn re
Gazindan li min neke
Û zêde xwe neqehirîne jî
Bi serê te yê ezîz kim
Ne bi rizedarî gihîştim vê biryarê
Lê madem vê cîhana bêbext
Pişta xwe da me
Çi bi salan em ewuqandin
Pêwîst e ku em jî pişta xwe bidinê
Û wê biterikînin

Wekî din tu çare nemabûn
Va ye ez diçim cîhana din
Li bendajiyana xwe me!. ..

# ABADÎNA HÊVİYA

Di şeveqa her sibehê de
Sewla kenê te yê dilmê
Wek gilokeke tîroj
Li nav çavên min dide
C bi kllskllsandina gizikên ciwan ve
Hiş û sewdan di serê min de nahêle.
Serpeze dibim
Ci perîşan dibim.
Ma çewa bikim, ?
Sûcê min e ha!
Dilê birîndar û têr evîn
Hew dikare xwe li ber hisreta te,
Hisreta dîtina te
C hisreta giyana te
Ragire.
Èdî milîm bi milîm
Qerqoda bergllmaniyan
Bêrawest dimehite
Û pergala hebûna xweşbîniyê
Serejêr dişemite.
Lê, hîn jî bi tevayî
Abadîna hêviyan hilneweşiyaye.
"Xwediyê mirî kar e."

## RİZANDİN

Helbet germoleya dildoşên engore
Ne girêker in j i seneda evînê re
Belkî ewlehiya firoşbar be
An jî dexezeriyên bi edamet
Kengê dibetile hespê azwerî
Bi h':rs derdikeve xencera dudev
Karpêtên marebendî ne girîng in
Amadedibe qayişên kemendê
Zînên gergedanan tê şidandin li qada herbê
Bi çavsorî hev dikşînin jin û mêr
Diqurmiçe dabînerên demkîtî
Belê nexweşî têqer e
Nabişkivin kulîlkên dem
Bedena baweriyê dirize
Li geleşdanka derewan ...
Ka roja ku em himêz dikin
Berbextiyên Zerdeştê Kal

## DLLÊ XEMBAR

Zêde xwe raht neke Delal
Ji bo paşdeanîna dîmenên dilgeş
Piştî te
Bagera karesatên gewre
Viqî vala kir
Aloleya gizikên ciwan
Bi anteroza sêguçeya bêxwedî ve
Li sûlaveke bêbinî wer bûm
Feleka xayin
Berevajî kir siûda min,
Hêj wek rqekê bostanan bixuyêm jî
Hew baweriya min tê
Bi çarenûsa rehçikiyayî.
Di buhara j iyaneke xeşîm de
Reftarên cuwaniya tiroleyî
Serî li min gerandin
Û ez bi temenê neseridî ve
Li derbendên talûke qelibandim.
"Heya ku min xwe nas kir,
Min temenê xwe xilas kir"
Bila hew vebêjin çîroka dilê xembar,
Di rûpelên peyamên dildaran de ...

## FERSEN DA BERAVÊTÎ

Şapeya derdên berbelav
Bi cihokên xewnan re bû yek
Çoltera azwerê meritand ji qûmê
Xeyalên bêkes ber bi navsera tenêtiyê ve bazdan
Perpitîn nehêniyên welwele
Hesreta salan rizandim
Bi diyariyên hemî ve.
Qelp derketin xelatên binerdîn
Hinarkê rûyê berbextiyê qelişî
Ajoyên faziq şelandin gencîneyên masûm
Bedeneke hişkoleyî
Tena serê xwe
Li nav sergoyê hevberdanê ma.
Xwezî we zanibûya ka niha
Di eyarên gunehên xwe de
Çiqas êş û çiqas ezap dikşînin.
Tew girêkên rabirdûyê jî
Wek kelbetana sobeya sincirî
Cerg û hinavên min dax didin
Û em sing bi sing
Bi hev re şer dikin
Cenga giran digere
Li qada hest û ramanan
Birîndar dibe dilê reben
Qey ji bextreşiya min e
Fersenda dawî jî beravêt!

## PASEROJA SEHİTÎ

Cardin tenêtî, Cardin tenêtî ...
Sev û roj
Li bostanê hêviyên min
Xunava birehm bibare jî
-l-ler nabare lê axir
Heya ku tu neyî
Qet gulpîvok şîn nabin ::
Şavsera zozanên derdorê
Sir û seqem e
Û rût-tazî di nav de me
Ya staaaarl

# CİWANÎ

Nexşeya çarenûsa min
Bi kilê subhanî xêz bikin
Da ku bi mûjankên canê re
Biteyise û bileyize
Berdewamiya temenê min
Bi biskên zirav re bihonin
Da ku her tim çiçikên guhan
Mist bide û bimije
Geşedana ciwaniya min
Bi zêrê helandî re bineqişînin
Da kul i gerdena zirav biale
O şev û roj sînga sipî ramûse ...

# Ji Weşanên Êkîtiya Nivîserên Kurd - Duhok

1- Nivêjek mestan e li dor gunbeda Cizîrî/ vekolîn, Dr. Fazil Umer- 2004
2- Xewnên tazî/ helbest, Ruxuşê Zîvar- 2004
3- Wexerek di nihêniyên deqî da/ rexne û vekolîn, Yasirê Hesenî- 2004
4- Biyavê xwandinê/ vekolîn, Celal Mistefa- 2004
5- Liber derazînka têkstan/xwandinên wêjeyî, Selam Balayî- 2004
6- Xwandingeha birisîkirinê/ çîrok, Sedîq Hamid- 2004
7- Hizir û dîtin/ hizir û rewşenbîriya kiştî, Dr. Arif Hîtu- 2004
8- Çend riyêk bo deqî/ vekolîn, Sebîh mihemed hesen- 2004
9- Berperekê winda ji jiyannama Selîmê Esmerê/ çîrok, Anwer Mihemed Tahir- 2004
10- Çend xwandinek şêwkarî/ vekolîn, Star Elî- 2005
11- Janên sînahiyê/ roman, Tehsîn Navişkî- 2005
12- Qîses min bîlad al- Nercis, Hesen Silîvanî) çapa duyem 2005
13- Gotarên rexneyî/ komele witar, Hoşeng Şêx Mihemed- 2005
14- Geriyanek di nav baxê edebê kurdî da, Reşîd Findî- 2005
15- Sotingeh/ roman Bilind Mihemed- 2005
16- Siyapoşê zêmarî/ çîrok, De- Fazil Umer- 2005

17- Şanoya hevçerx û çend dîtin/ Siyar Temir- 2005
18- Viyan di demekê jandar da/ roman, Mihsin Abid Al- rehman- 2005
19- Teknîka vegêranê di kurte çîrokên (Fazil Umerî de) vekolîn, Nefîsa Îsmayil- 2005
20- Mîrî û kevok/ çîrokên zarokan, Dr. Abidî Hacî- 2005
21- Hejde çîvanokên gurga/ çîrok, B. Mihemed Abidallih (çapa diwem)- 2005
22- Rustemê Zalê/ filklur, Dr. Arif Hîtu (çapa diwê) - 2005
23- Şihîna çiyayê spî/ kurte çîrok, Nizar Mihemed seîd- 2005
24- Cemiserê siyê/ kurte çîrok, Salid Salih- 2005
25- Ey roj neçe ava/ pexşan, Selam Balayî- 2005
26- Ji rewşenbîriya kurdî/ vekolîn- gotar, Nacî Taha Berwarî- 2005
27- Zarokên cîhana aştî û aşopê/ vekolîn, Hizirivan Abiduallih- 2005
28- Dihok di serboran de/ bîrewerî, Sedîq Hamid- 2005
29- Cak dirêda û helweşandin/ vekolîn, Dr. Fazil Umer- 2005
30- Dawiya şervanekî/ roman, Îsmet Mihemed Bedel- 2005
31- Pêlên rexneyî/ rexne, Nimet Allih Hamid Nihêlî- 2005
32- Dema hêşta giyanewer dişiyan baxivn/ çîvanokên millî, W- Hecî Cefer- 2005
33- Ber bi deqê xomalî/ deq û şirovekirin, Îbrahîm

Ehmed Simo- 2005
34- Mêmêtîkis, ji hizirikirinê taku aydyolociyayê/ di- Fazil Umer- 2005
35- Kelitor- - Nasyonalîzim û erebkirin/ vekolîn, Ebdal Nurî- 2005
36- Peyvên bê perde/ vekolînên rexna edebî, Abid Alxaliq Sultan- 2005
37- Nivîstin di çavê nêrgzê da/ helbest, Beşîr Mizûrî- 2005
38- Ji felsefa berxudanê/ helbest, Remezan Îsa- 2005
39- Ewê dijî hemiya/ kurte çîrok, Sebîh Mihemed Hesen- 2005
40- Nijiyargerî/ Dr. Fazil Umer- 2005
41- Bîst sal û êvarek/ roman, Sebirî Silêvaneî- 2005
42- Nivêsîn dinavbera nivîserên xudawend û lêgeryan li azadiyê/ vekolîn, Hoşeng Şêx Mihemed- 2005
43- Ji çîrokên millî yên filklorî/ Cemîl Mihemed Şêlazî- 2005
44- Cewahir Al- mubdeîn/ munaqeşat adbiye, Îsmayil Badî- 2005
45- Dîmenên peçnî/ çîrok, Kîvî Arif- 2005
46- Tîr ji kivana diweşiyên û ber tîne min/ helbest, Selman Kovlî- 2005
47- Kevalekê rwîs/ helbest, Şukirî Şehbaz- 2005
48- Dewlet û eşqeka kevnar/ helbest, Deyka Daliyayê- 2005
49- Şevên bê xew/ helbest, Beyar Bavî- 2005
50- Arzandina bendemanê/ Hizirivan- 2005
51- Çaxê roj dipeyvît/ helbest, Şemal Akireyî- 2005
52- Dû çemkên havîbûn yaxîbûn/ Emîn Abid

Alqadir- 2005
53- Rastî û talan/ Sibihî Mirad- 2005
54- Deftera bê gunehiyê/ helbest, Abid Al- rehman Bamerinî- 2005
55- Ziman û zimanivanî/ Abid Al- Wehab Xalid- 2005
56- Evîn, xem û mirin/ helbest, Gîb deştanî- 2005
57- Zindana biçûk/ helbest, Azîz Xemcivîn- 2005
58- Aşiq di behşteka yutubiyayî da/ helbest, Mistefa Selîm- 2005
59- Ezê di hembêza henasên te de/ çîrok, Îsmayil Mistefa- 2006
60- Roman li devera behdînan/ vekolîn, Remezan Hecî- 2006
61- Raya giştî, têgeh û pênasîn û guhorîn û pîvana zanistî/ vekolîn, Mislim Batêlî- 2006
62- Helbesitên rengîn/ helbest, W: Tengezarê Marînî- 2006
63- Tevnikera kurd, hunermenda berze/ vekolîn, W: Mesûd Xalid Gulî- 2006
64- Çapeneniyêt rewşenbîrêt devera behdînan (1935 - 2000) bîlugrafiya, Wesfî Hesen Ridênî- 2006
65- Şeva firîşte revîn/ çîrok, Îsmayil Silêman Hacanî- 2006
66- Gilolika aliziyaî, îdiyemên kurdî, Xalid Salih- 2006
67- Nivêjeka baranê, helbest, Heval Findî- 2006
68- Ruj, helbest, Hişiyar Mihemed Hesen Rêkanî- 2006
69- Ayirdeyên viyanê, helbest, Bilind Mihemed- 2006
70- Derdê evînê(nuvlêt) Yûnis Ahmed 2006
71- Efsaneya stiranên bindesitiyê, Necîb Balayî- 2006
72- Xewneka emirîk (kumeka çîrokên Ezîz Nesîn) W:

Xeyirî Buzanî 2006
73- Hizirînek di zimanê kurdî de, Reşîd Findî
74- Xanî mamustayê siyemîn, Mem Şerîf- 2006
75- Ji awazên ciwaniyê, helbest, Nacî Taha Beriwarî-2006
76- Çend belge name yên mîjwî li dor kurdan, Dr. Selah Hirurî- 2006
77- Meşa bûkan, helbest, Hêvî Berwarî- 2006
78- Ew zelamê digel xwe ji yek cuda, şano, Siyar Temir
79- Pelên eşqê, helbest, Diribas Mistefa- 2006
80- Şevên sar, roman, Hesen Îbrahîm- 2006
81- Helbest bo delalê, helbest, Xalid Hisên- 2006
82- Balulka şekirê, kurte çîrok, Hesen Silêvanî- 2006
83- Heyranok namên evîndaran, fulklor, Adîb Abidullah- 2006

84- Mirin di qişleya padşahî de, kurte çîrok, Mihsin Abid Al- rehman- 2006
85- Cîvanoka gayê sor, fulklor, Cemîl Mihemed Şêlazî-2006
86- Selwa hêj belalîske, helbest, Luqman Asîhî- 2006
87- Bilîcan, roman, Perwîz Cîhanî- 2006
88- Lê,ilîxana goveyî,çîrok, filiklor,Mistefa Bamernî
89- Vegre- Roman, Şahîn Bekir Suwereklî- 2006
90- Qedera min- helbest- Selman Şêx Memê- 2006
91- Bihnişk- Folklor,Mehemed Hesen Binavî- 2006
92- Armanc- helbest, Sebrî Hekkarî- 2006
93- Bakurê Dil- helbest, Dilşa Yusif- 2006
94- Xwenek Binevşî- çîrok,Esmet Mehemed Bedel-2006

95- Nehîniyên Xameî- helbest,Sebrî Nehêl- 2006
96- Henasek Di Peristgeha şiirê de, xwendinên wêjeyî, Selam Balayî- 2006
97- Şoreşên Barzan- helbest, Heydar Metînî- 2006
98- Aşqa me çiryeka zerdeştiye, Esmaîl Mistefa- 2006
99- Tenhistan- helbest, Kemal Silevaneyî- 2006
100- Şaxêd dstana Rustemê Zal ê kurdî, Prof- Haçî yê Cundî- 2006
101- Maqalat neqdiye fî nusus el nercis- Mecmuat kutab- 2006
102- Dîwana helbestan, Esmaîl Taha Şahîn- 2006
103- Dev çi nanbihîsin- çîrok, Têlî Salih Mûsa- 2006
104- Şeveka bê nivêj- helbest, Layiq Cemal- 2006
105- Paradoksîzim- lêkolîn, Îsmet Mihemed
106-Dosya Barzanî-lêkolîn, Wezîrê Eşo-2007
107- Helebçe- helbest, Seydayê Keleş- 2007
108- Çavên Sîtavkê-roman , Tehsîn Navişkî- 2007
109- Bakurê Helbestê- Antolojiya, Arjen Arî- 2007
110- Awazên Mirinê- çîrok , Nefîsa Îsmaîl Tahir- 2007
111- Sore Birîna Şeva Min- helbest, Selwa Gulî-2007
112-Aşq Di Xelwetgehên Mirinê de-helbest ,Aştî Germavî-2007
113- Sirûdên Rojihilatî-çîrok, Celal Mistefa-2007
114- Aryana Sînorên Dûr-helbest, Mesûd Xelef-2007

www.duhokwriters.net

# NAVEROK